ewan hinek hevrî ji Yezdan ra çê kirine, ewan hevrîyan jî wekî Yezdan (tiştan) diafirînin, îdî afirandina tiştan li bal wan wekî hev bûne (ji hev dernaxin: kîjan Yezdan afirandine, kîjan hevrîyan afirandine. Muhemmed! Tu ji wan ra) bêje: "Afirandokê hemû tiştan Yezdan e. Lê ewa servahatê bi tenê ye.

17. 17(Ji wan ra bêje: "Hecwekîya perestî ya Yezdan û perestîya pûçan aha ne; wekî ça) av ji azmanan dihinire, îdî leyî dikişe dikebe newalan, şirik çê dibin, paşê leyî bi belqoqî kef digire (av dimîne, kef diçe). Wekî (gava ku hûn ji xwe ra bivên) xişir û dezgahan çêkin, hûn li ser madenan agir pê dixin, madenan dibahitînin (helandin) li ser rûyê madenan to digire (dema xebatê) to diçe, Lê maden dimîne, perestîya Yezdan û perestîya pûçan bi vî awayî ye (perestîya Yezdan dimîne. Lê perestîya pûçan diçe kêr nayê.)" Her wusa Yezdan ji bona wan tiştên veşartî heçwektîyan vedike.
18. 18Ji bona wanê, ku bbersiva Xudayê xwe dane, qencê xelatan heye. Ji bona wanê bersiva Xuda ne dane, heke hemî heyînên di zemîn da hene, wekî wan dîsa hebin jî ewanê (ji bo ku xwe ji şapata Yezdan fereste bikin) wê hemûşkî di şûna xwe da bidin. Hey ji bona wan ra sikê çelatan bi hijmarî heye û şûnwarê wan hey doj e. (Doj çiqa) sikê hêlanan e!
19. 19Qe ewê dizane tişta ji Xudayê te li bal te da hatîye hinartinê rast e, wekî wî yê, ku kor e (dibêje: "Ewa ne rast e)" dibe? Evê hey xweyê hiş bîra xwe tînin.
20. 20(Xweyê hiş) ew in, ku peymana dane (Yezdan, bi yekatîya wî) pêk tînîn û peyman dayî naşikênin.
21. 21Û (ewanê xweyê hiş) tişta, ku Yezdan fermana gîhîjtin û gîhandina wî kirîye, pêk tînin û digihînin (ji bira û pismam û merivan, giza xwe nabirin, sertêdan û serdana wan ra diçin) û ji Xudayê xwe ditirsin û xwe ji sikê hijmaran diparisînin.
22. 22Û (ewanê xweyê hiş) ji bona qayîlbûna Xudayê xwe (li ser perestîya wî) hew dikin (wekî ça hatine fermankirinê wusa) nimêj dikin û bi dizî û eşkere ji wan rojîyên me daye wan ji hewcan ra disixwurînin û ewan sikatîyan, bi qencîyan diborînin. Serfirazîya para da ji bona ra ne.

23.23(Serfirazîya para da ev e;) ku evan û tevê wan bav û da û zar û zonên xweyên aştîkar va dikebine bihişta xweşîyan, firişte jî di hemû deryan da dikebine bal wan.
24.24(Ji wan ra aha dibêjin): "Bi sedema hewa we ye (cîhanî, ka mêze bikin Yezdan dawya cîhanê ça ji we ra) qencî anî, îdî hûn bijîn."
25.25Ewanê ku (di cara yekem da peyman dane Yezdan, gotine: "Tişta me dayî, bê dudilî emê pêk bînin." Paşê) peymana xwe şikênandine û tişta Yezdan fermana gîhandina wî kirîye, ewan birîne (gîhandinê pêk naynin, di şûna wî da di nava bira û pismaman da) di zemîn da têkilkirinê çê dikin (ewan berê hev didin) hene! Ji bona wan ra deherandina ji (dilovanîya Yezdan) heye û ji bona wan ra sikê xanîyan heye.
26.26Ewê ku rojînan bi vîna xwe ji bona (heyan ra) kêm û pir dike, ewa Yezdan e. Ji ber piratîya rojînan) ewan bi jîna cîhanê şa dibin, jîna cîhanê jî (li ber jîna para da) ji pêştirê pînan tu tişt nîne.
27.27Ewanê bûne file hene! Dibêjin: “Heke ji Xudayê (Muhemmed) wekî (ça em divên berate bihatinan, dibû ku me bi wî) bawer bikira, çi dibû ku berate bihatinan?" (Muhemmed! Tu ji wan ra) bêje: "Bi rastî Yezdan (rê) wundabûna kî bivê (rêya wî) wunda dike. Û ewanê bi dilê xwe li bal wî da fetilî bin, tîne rêya rast."
28.28(Ewanê hatine rêya rast, ew in ku bi Yezdan) bawer kirine û dilê wan bi bîranîna Yezdan hew dike. Hişyar be! Bi rastî dil, bi bîranîna Yezdan (li ser teşqelan) hew dike.
29.29Ewan kesên ku bawer kirine û karê aştî kirine hene! Ji bona wan ra (evan gotinê hanê hene!) "Xwezîya me bi wan hatî, ji wan ra êwirên qencî hene."
30.30(Me ça di berya te da pêxember şandibûn) wusa em te jî li bal komalekî ku filetîya (Yezdanê) dilovan dikin, di berya wan da jî pir kom borîne, dişînin, ji bo tişta me li bal te da hinartîye tu ji wan ra bixûnî. (Muhemmed! Tu ji wan ra) bêje: "Ewa (Xudayê dilovan) Xudayê min e; ji pêştirê wî tu (yezdanê babetê perestîyê) tune ye. Min xwe hispartîye wî, hey (para hatina ji sikatîyan) li bal wî da ne.
31.31Û ewan (filan aha gotine: "Heke Muhemmed! Ça Qur’an , anîbû) bi Qur’anê ra çîya (li dorê me) rabûnan (me ji xwe ra zevî biçandinan, cîhê me fire bibûya) ya jî ji me ra hinek zemîn biqetanda (di nava wî da çemê av ê

bikişîyan me bireşanda) ya jî mirî (rakira bi me ra) mijûl bibûnan (meyê bawer bikira û ewa dibû Qur'an )." Lê fermana (van bûyeran) hemî jî ji bona Yezdan ra ne. Îdî qey ewanê bawer kirine negîhîjtinê, ku heke Yezdan biva, wê hamû kesê (ji alîyê Yezdan da) bihatina rêya rast. Ewanê bûne file hene! Ji piştî wan, heke nişkeva şapatek li wan kebe, ya jî nêzê welatê wan aşîtek bikebe, heya danê peymana hatina wê aşîtê neyê, ewa aşîta bi ser wan da nayê. Bi rastî Yezdan ji peymana daye para naçe.

32. 32Bi sond! Bi wan pêxemberên berya te da borî jî hatîye tinazkirinê, îdî me jî ji bona wanê bûne file ra mecal daye, paşê ewan me bi şapatan girtin. Îdî (mêze bike) ka şapatê min (ji wan ra) çane!
33. 33Îdî (mêze bike) qe ji bona wî (Yezdan)ê ku li ser hemî candaran bi kirina wan (dîdevan e, hevrî têne çêkirinê? Ewan (filan) ji bona Yezdan ra jî hevrî çê kirine. (Muhemmed! Tu ji wan ra bêje): "Ka, navan li wan (perestvanên xwe bikin, ku em mêze bikin alyekî wanê babetê perestîyê heye?) ya jî gelo hûnê bêjin: "Tişt di zemîn da hene, Yezdan bi wan nizane?" Ya jî hûn hey peyvên belaş dibêjin? Gotina wan nîne. Bi rastî (pelîd) ji bona wanê file ra kirinê wan daye xemilandinê (endezeyên wan xweşik tîne xûyandinê) û ewan ji rêya wî hatine fetilandinê. Û Yezdan kîjanî wunda bike, îdî ji wî ra qe tu beled tune ye.
34. 34Di jîna cîhanê da ji bona (wanê rê derketî ra) şapatek heye û bi sond! Şapata para da hêj zortir e. Tu parisvanê ku ewana ji şapata Yezdan biparisîne, tune ye.
35. 35Hecwekîya we bihişta, ku ji bona wanê xwe (ji bê fermanîya Yezdan) parisandine hatîye peymandanê (eva ye): "Di binê (darê) wê da çem dikişin, xwurek û sîhîyên wê her hene." Encama wanê xwe paris, eva ye. Encama filan jî agir e.
36. 36Ewanê (ku me di berê da ji wan ra pirtûk şandîye) bi vê pirtûka me li bal te da niqandîye şa dibin. Lê ji partîyan hinek hene! Ku bi hinekî (Qur'anê) bawer nakin. Tu (ji wan ra) bêje: "Ez hatime fermankirinê, ku ez bi rastî perestîya Yezdan bikim û ez ji wî ra hevrîyan çê nekim, ez hey li bal (Yezdan da) gazî (we) dikim û êwra (para da) hey (li bal Yezdan da ne)."
37. 37(Me di berya te da pirtûkên hizger bi ezmanê komal ê wan li ser wan da hinartîye) wusa jî me ser te da pirtûka (bi nav Qur'anê bi zimanê) Ereban

hinartîye (ji bo ku tu bi wan biryarên wê, fermanê) berewanî bikî. Heke ji piştî, ku ji te ra zanîn hatibe, paşê tu bibî pewrewê (hewesa filan) îdî ji bona te re tu parisvan û serkarê, ku te (ji şapata) Yezdan fereste bike tune ye.

38. 38Û bi sond! Di berya te da jî (ewan pêxemberên wekî te meriv bûn) me li bal (kesan da) şandine ji bona wan ra jî jin û zar û ûrt me dane. (Ewan filan çi dibêjin bila bêjin, tu nexeyîde). Tu pêxemberek nikare bê destûra Yezdan beratên, ku meriv bi (pêkanîna wan bêzar dibin) bîne. (Ewan danê şapatê dipirsin, heya danê wan şapatan neyê, şapat bi wan da nayê) loma ji bona her bûyerekî danê (hatina wê) heye.
39. 39(Ku ewa bûyera di wî danî da tê û di wî danî da diçe). Yezdan bi vîna xwe, tişta ku bivê (di wan dana da) diheşîvîne û tişta bi mayîna wan bivê (ewan jî heya danê wan dihîle), Dayîka wan şixwa li bal Yezdan e: (di gewdê hemî heyan da genê pîvandayî hene. Yezdan ji wan genan kîjane pîr bûye, ya jî danê mirina wî hatîye, ewî di wî danî da dimirîne paşê hinek genên jîndarî, di şûna wan genên mirî da bi cîh dike. Her wusa ewan heya danê para da bi pîvayî tên û diçin. Lê dayîka wan genan di şûna xwe da dimîne).
40. 40Heke em hinekî ji wê şapata ku me ji wan ra peyman daye (ji ber ku ewan bi te bawer nakin, bi wan da bînin); bi te bidine dîtinê, ya jî hêj te ewa şapata nedîtibe, em canê te bistînin, qe tu kovan tune ye, li ser te hey (eva heye), "Gelo te ewan biryarên me, ji wan ra gotîye ya ne gotîye?” Hijmara (xelat û celata wan jî) li ser me ye.
41. 41Ma qey ewan nabînin, ku em zemîn tînin; li doranê wî em kêm dikin (ava ya em kavil dikin, ciwanan em kal dikin, dimirînin, zemînê wan ji destê wan derdixin, dixine destê hinekê mayî). Yezdan (bi van biryaran) berewanî dike. Tu kesê bikebe pey fermanê Yezdan bide para tune ye. Ewa zû hijmarê (van biryaran e).
42. 42Bi sond! Ewan (fileyên) di berya wan da jî endeze kirine (ku pêxemberên xwe, bixapînin). Lê hemî endeze (di zanîna) Yezdan da nin. Can çi ked bike ew bi wî dizane. Wê fileyî jî bizanin ka dawya vê cîhanê ji bo kî re ne!
43. 43Ewanê bûne file hene! (Muhemmed! Ji te ra) dibêjin: "Bi rastî tu (ji bal Yezdan da li bal me da bi pêxemberî) ne hatî şandıne." (Tu ji wan ra) bêje: "Di nîveka min û we da bi nêhrewanî (şahid) Yezdan û ewê zanîna pirtûkê li bal heye, bes e.

## Chapter 14 (Sura 14)

1. 1E.L.R. (Hey Yezdan bi arşa van tîpan dizane). Me eva pirtûka li bal te da hînartîye, ji bo ku tu kesan bi destûra Xudayê wan, ji tarîtîya (ne zanîn û filetîyê) li bal ruhnaya (zanîn û bawerîyê da) derxî (ewa jî) rêya Xudayê servahat ê pesinvan e.
2. 2Ewa Yezdana (Xudayekî wusa ne) ku hemû tiştên di ezman û zemîn da hene ji wî ra nin. Ji bona şapata (Yezdan e) zor, xwelî li wan filan be!
3. 3(Ewan file yên wusa nin) jîna cîhanî, ji jîna dawyê pirtir hez kirine. (Ewan) divên, ku rêya Yezdan (li ber kesan xar bikin û) bigirin. Ewanan bi rastî di rê wundabûneke dûr da nin.
4. 4Me çiqa pêxemberek şandibe, hey ewa bi zimanê komalê xwe hatîye şandinê, ji bo ku (bizane fermanê me) ji wî koma xwe ra veke (û bi zanîn ji wan ra bêje): “Îdî Yezdan ji kê ra bivê ewî ji rêya (rast) dûr dixe û ji kê ra jî bivê ewî tîne rêya rast.” Bi rastî (Yezdan) servahatê bijejke ye.
5. 5Bi sond! Me Mûsa bi beratên xwe va (bi pêxemberî li bal koma wî da) şandîye. (Me ji Mûsa ra got: "Mûsa!) Tu komalê xwe ji tarîtîya (nezanî û koletîyê) li bal ruhnaya (zanîn û azadîyê da) derxe û tu ewan royên (ku di wan royan da, şapat bi wan komalê file da hatîye) bixe bîra, wan. Bi rastî di van da ji bona hemû kesê (ku li ser şapatan) hewdarî kirine û sipazîya (Yezdan) kirine, beratên sodret hene."
6. 6Û di gava Mûsa ji bona komalê xwe ra (aha) gotibû: "Gelê komalê min! Dema Fir’ewn û bi komalê xwe va hûn bi sike şapatan didane cefadanê bîra xwe bînin. Loma ewan zarên we yên kurîn dikuştin û jinê we jî para da bi rindî dihîştin. Yezdan bi we qenc kir hûn ji wan fereste kirin. Bi rastî (di van şapatan da) ji Xudayê we, ji bona we ra ceribandineke mezin heye."
7. 7Û (gelî cihûyan! Xudyê we gavekî ji bona we ra aha) gotîbû: "Heke hûn li ser wan (qencîyên ku min ji we ra kirîye) sipazî bikin, ezê ewan (qencîyan) ji bona we ra pir bikim û heke hûn nankorî bikin (bi rastî agaha we hebe) şapata min pir zor e."
8. 8Mûsa (ji koma xwe ra aha) gotîye: "(Gelê min!) heke hûn hemû û bi wan heyînên di zemîn da hene, nankorî bikin jî (bizanin! Bi rastî) Yezdan ji hemû (heyînên cîhanê û ezmanî) bê perwa ye û pesinvan e."

9. 9"Qey zanîna bi serdaborya wan (pêxemberên) berya we da bûn, ji bona we ra ne hatîye (ka ewan çi bi serê wan pêxemberên xwe kirine? Ewan komalan); Komalê Nûh û Ad û Semûd û ewan komalên pey wan da hatî, ji pêştirê Yezdan tu kes bi hijmara wan nizane. Pêxemberên wan (bi beratên) daveker va hatibûne bal wan (ji wan ra şîretên bi qencîyan dikirin). Îdî ewan komalê wan (pêxemberan ji hêrsa) destê xwe danîne ser devê xwe (Qîr dane wan pêxemberên xwe, ji wan ra gotine: "(Bes in, evan şîretan nekin, em bi wan şîretên we gêj bûn). Bi rastî em bi wê tişta ku hûn ji me ra dibêjin, bûne file (bi we bawer nakin) û bi rastî em bi wî yê ku hûn me, li bal wî da gazî dikin, di dudilyekî bê goman da nin."
10. 10Pêxemberên wan ji wan ra gotine: "Qe (di hebûna) Yezdan da dudilî çê dibe? Ewî ezman û zemîn afirandîye ewa, gazî we dike, ji bo ku ewa gonehên we ji bona we ra bibaxişîne û ewa heya danê navdayî we (di cîhanê da) dihêle.” Ewan (bersiva pêxemberan didin) dibêjin:"Hûn jî merivên wekî me ne. Hûn ji me dixwazin, ku em dest ji perestîya wan tiştên ku, bav û kalê me ji wan ra perestî kirine, berdin. Heke hûn (di van dozê xwe da rast in, ka) ji me ra beratên bi hêz û daveker bînin."
11. 11Pêxemberên wan ji wan ra gotine: "(Hûn rast in) em jî merivê wekî we ne, ji xencî wî tu tişt nînin. Lê Yezdan ji kîjan bendê xwe ra bivê, ji wî ra (pêxemberî) dide. Ji pêştirê destûra Yezdan ji me ra tu hêz tune ye, ku em beratên hêztir bînin. Îdî (gelî) bawergeran! Hûn xwe hispêrin Yezdan."
12. 12"Ma qey çi bûye ji bona me ra, ku em xwe ne hispêrin Yezdan? Bi sond! ewî em anîne rêya me ya (rast). Bi rastî emê li ser van cefanên ku hûn didine me hew bikin, hisparok bi xweber jî xwe di hêspêrin Yezdan."
13. 13Ewanê bûne file (hene! Ewan ji bona) pêxemberên xwe ra gotine: “(Ji van her du rêyan hûnê yekî ji xwe ra hilbijêrin); ya emê we ji welatê xwe derxin (îdî em gohdarya we nekin) ya hûnê (dîsa werin) ola komal ê me." (Dema pêxember ji bawerîya wan bê hêvî bûne) îdî Xudayê wan ji wan ra niqandîye: "(Gelî Pêxemberên min! Hûn bi mirûz nebin, bi rastî) emê cewrkaran teşqele bikin."
14. 14"Û emê di pey wan da, we di zemîn da biêwirînin. Ewa (peymana hanê) ji bona wanê ku ji payen û celatên (minê peyman dayî) tirsîyane heye."

15. 15Û (ewan pêxemberan) servahatina bi ser neyaran (ji Yezdan) xwestine, îdî hemû înckarên serdest bê hêvî mane.
16. 16Di pey (bê hêvî manê) ji wan ra doj heye (di dojê da ewan) bi aveke kêm û xûnê têne avdanê.
17. 17Ewa ewê avê diqurtîne, lê jê ra çê nabe, ku di qirika xwe da bixe xwarê û ji wî ra di hemû cihî da mirin hatîye (di xwarê ku bimire) lê namire. (Çavê wî wusa zoq dimîne). Di peyda jî (ji bona wî ra) şapateke peywestî heye.
18. 18Hecwekîya wanê ku filetîya Xuda yê xwe dikin hene! Kirinê wan wekî wanê ku di royeke bager da be, ariştê xwelîyê bide bayê (ça ewê arişt dide bayê, tu tişt destê wî da namîne, eva jî) çi ked kiribe, nikare qe tu tiştî ji keda xwe bigire. Rê wundabûna dûr, eva ye!
19. 19Ma qey tu (li bal ezman û zemîn da) mêze nakî, bi rastî Yezdan ezman û zemîn bi mafîtî afirandîye? Heke (Yezdan) bivê wê we (bimirîne) behere, di (şûna we da) hinek afirandinên nû, bîne.
20. 20Û ewa kirina (hanê jî) li ser Yezdan zor nîne (hesanî ye).
21. 21(Di roya rabûna hemû da) ewan bi tevê (kirinê xwe va) di hemberê Yezdan da xûya dibin (ewan bi xweber jî digotibûne: "Evan kirinê me li bal Yezdan nayêne xûyandinê." Yezdan dema kirinê wan bi wan daye xûyandinû) îdî ewanê bê wec ji bona wan peyrewên xweyên (ku doza mezinatî kiribûne) gotine: "Bi rastî em ji bona we ra peyrewan bûn, îdî qe hûn nikarin ku me tiştekî ji şapata Yezdan bi parisînin?” Ewan pêşrewanan (bersiva bê wecan aha dane) gotine: "Heke Yezdan em anîbûna rêya rast, meyê jî hûn bianîna rêya rast. ji bona me ra qe tu ferestebûnî (ji aşîta Yezdan) tune ye, îdî em çi qîr û hewar bikin û em çi hew bikin, li ser me yek e (tu raqetana wan tune ye)."
22. 22Ji piştî ku bûyera (wan) pêk hatîye, pelîd ji bona (wan fileyên ku çûne dojê aha) gotîye: "Bi rastî Yezdan ji bona we ra peymana xwe yê maf dabû, min jî ji bona we ra peyman dabû. Lê îdî ez ji peymana xwe poşman bûm (min peymana xwe pêk neanî) ji bona min ra li ser we (ji bo ku hûn bibine file) qe tu hêz tune bû, ji pêştirê min gazî we kiribû, îdî we jî bersiva min dabû (hûn li pey min hatin, bûne file). Îdî hûn gazinan ji min nekin, û hûn hey gazinan ji xwe bikin. Ez nikarim we (ji şapatan) fereste bikim. Bi rastî hêj di berê da, ku we ez dixistime hevrî (ji bona Yezdan ra) min dest ji we berdabû (bi wê

kirina we bawer ne dikir). Bi rastî ji bona cewrkaran ra şapateke dilsoz heye."

23.23Ewanê bawer kirine û karê aştî kirine (hene!) ewanan dikebine bihişta ku di binê (darê wê da) çema av ê dikişin: (ewan) bi destûra Xudayê xwe (di wê bihiştê da) hey dimînin. Sertêdana wan (di bihiştê da) ji hev ra "Selam" dibêjin.

24.24Ma qey te ne dîtîye, Yezdan hecwekî ça dane çêkirinê? Peyveke paqij wekî dareke paqij e; ça çiqilê wê darê jor da ne, koka wê jî di zemîn da rehvedaye (ewa peyva jî ji merivan derdikebe, lê qencêyên wê jî bi jor da diçin).

25.25Di hemû gavan da berên ku ji wê darê têne xwarinê, bi destûra Xudayê (wê darê) tên. (Qencîyên ji wan peyvan jî di hemû gavan da têne goman kirinê). Yezdan evan hecwekîyan ji bona kesan ra tîne, hêvî heye ku bi rastî ewan kesan ji van hecwekîyan hiş hildin.

26.26Peyva sik jî wekî sik e, ewa dara a sik ça li ser zemîn bûye qurm maye (kêrê tu tiştî nayê: berê wê tune ye, ku meriv ji wê bixun, li wê mêze bikin, peyva sik jî wusa ne) qe ji wê darê ra tu hew tune ye.

27.27Yezdan ewanê bawer kirine; di cîhan û di para da jî dihewîne. Û Yezdan cewrkaran jî (wekî dara sikê ku tu hew jê ra tune ye) ji rêya rast wunda dike. Yezdan çi bivê ewî dike.

28.28Ma qey tu li wanê, ku qencîyên Yezdan bi nankorîyê (û xirabîyê) guhurandine û komalê xwe jî di xanîyê teşqelê da êwirandine, mêze nakî (ka temtêla wan ça ne)?

29.29Ewa xanîya doj e (ewanê) hemû li bal dojê da pal bidin. Ewa çiqa sikê ewra ne!

30.30Ji bona ku rêya Yezdan wunda bikin, ji bona Yezdan ra hevrî çê kirine. (Muhemmed! Tu ji wan ra) bêje: "Hûn di xweşîya xwe da dûm bikin, loma bi rastî hey zivirandina we li bal agir da ne."

31.31(Muhemmed! Tu ji bona wan bendeyên minê bawer kirine) bêje: "Me ça fermana wan kirîye) bira nimêja xwe wusa bikin û rozîyên me dane wan, hêj ewa roya tu kirîn û fırotin têda tune ye û yartî jî têda tune ye (ne hatîye) bi dizî û eşkere (ji bona hewcan ra) bidin."

32.32Ewê ku ezman û zemîn afirandîye heye! Ewa Yezdan e, ewî ji ezmanan avek hinartîye, îdî (bi fermana wî) ji bona we ra, ji berên cure cure bi wê avê rozî derxistîye û ewî ji bona we ra kelek semerin kirîye, ji bo ku hûn bi fermana wî di zeryayê da bigerin. Û Yezdan çemên avê jî xistîye binê destê we.
33.33(Yezdan tûm caran) roj û hîv jî, ku yek ji yeka mayî dûr nekebe û ji hev neçin jî sernerm kirîye (xistîye binê fermanê, ji bona qencîya bi we ra). Ça şev û ro jî (ji bona qencîyan xistîye binê fermanê, ku hûn di wan gavan da ji xwe ra xebatê bikin.)
34.34Û we çi (ji Yezdan) xwesti be, ewî ewan hemû ji bona we ra anîye, daye. Heke hûn qencîyên Yezdan e (ku bi we kirîye) bihijmirin, hûn nikarin ewan (qencîyan) bi deste deste jî bihejmirin. Bi rastî meriv (ji bona xwe ra) zor cewrkar û nankor e!
35.35Îbrahîm di gavekî da (aha) gotibû: "Xuda! Tu evî bajarê hanê ji hemû (sikatîyan) ewle bike. (Xuda!) tu min û zarên min ji perestîya pûtan biparisîne."
36.36"Xuda! Bi rastî ewan (pûtan) pirên ji kesan, ji rêya rast dane wundakirinê. Îdî (Xuda!) kîjan bibe peyrewê min, ewa ji min e û kîjan bê gotina min bike, bi rastî îdî hey tu î baxişgerê dilovîn."
37.37"Xudayê me! Bi rastî min ji ûrta xwe di newaleke bê çandin, 1i bal xanîyê te yê, ku li dora wî da kirina sikatîyan qedexe ne, daye hewandinê. Xuda! (min wusa kirîye) ji bona ku ewan nimêj bikin; îdî (Xuda!) tu dilê hinek kesan jî û bal wan da xar bike (ji bo ku herne bal wan, ewan bi tenê nemînin. Xuda!) Tu ji beran, ji wan ra rozînî bide, bi rastî hêvî heye ku ewan sipazîya (te) bikin."
38.38"Xudayê me! Bi rastî tu bi kirinê me yê dizî û eşkere dizanî (em çi tiştî veşerin ya jî eşkere bikin, tu bi hemûyan dizanî) di ezman û zemîn da tu tişt li ser Yezdan veşartî nîne."
39.39“Ew Yezdanê ku di gavê kaltî ya min da Ismaîl û Ishaq, ji min ra raber kirîye, hemû sipazî ji wî ra be. Loma bi rastî Xudayê min gazî kirinan (bi litêkirin) dibêhê!"
40.40"Xudayê min! Tu ji bona min û hinekê ji ûrta min (xûyekî wusa bidî me) ku em bi peywestî, nimêj bikin. Xudayê me! Tu (van) xwastinê me litê bike."

41.41"Xudayê me! Di roya hijmara (kirinan) tu min û dê û bavê min û bawergeran bibaxişînî."
42.42(Muhemmed!) Tu goman neke ku Yezdan ji kirinê wan cewrkaran bê agah e. Lê Yezdan celata wan para da ji bona wê roya çav têda zoq dibin, dihêle.
43.43(Di wê royê da) ewan serê xwe bilind dikin, direvin: Çavê wan (wusa zoq dimîne) li bal wan da nafetile, dilê wan (ji qencîyan) vala ye.
44.44(Muhemmed!) Tu merivan ji wê roya, ku şapat di wê royê da ji wan ra tê dayînê, bide tirsandinê, îdî ewanê cewr kirine hene! (aha) dibêjin: "Xudayê me! Tu ji bona me ra heya danekî nêzîk firsendê bide, emê ji bona gazîkirina te ra bersivê bidin (fermanê te li pêk bînin) û emê bibne peyrewê pêxemberan." Ma qey di berya naha da we sond nedixwar, ku ji bona we ra tu çûna ava tune ye?
45.45Hûn di şûna wanê, ku bi xweber li xwe cewr kiribûn êwirîne, ji bona we ra diyar bûye; ka me ça ewan (şapat) kirine û me ji bona we ra jî (ji temtêla wan) hecwekî anîbû (wusa nîne?).
46.46Bi sond! Ewan endezên xwe çê kirine, ji wan endezên wan çîya di şûna xwe da jî herin, hey Yezdanê celata wan bi endezan bide.
47.47(Muhemmed!) Tu goman neke, ku Yezdan ji wê peymana daye pêxemberên xwe, poşman bûye. Bi rastî Yezdan servahatê xwe yê tûl e!
48.48Di wê roya ku zemîn bê zemînî û ezman bê ezmanî têne guhurandinê, hemû (heyî) di hemberê Yezdanê servahatî yê bi tenê da, xûya dibin.
49.49Di wê royê da (Muhemmed!) tu dibînî, ku nûsîtemkar bi heva (deste deste) hatine tewldanê.
50.50Kirasê wan ji qîrên e, agir ser çavê wan diniximîne.
51.51Ji bo ku Yezdan her kesî bi keda wî bide celatkirinê (evan tiştan) dike. Bi rastî Yezdan zor zû hijmare!
52.52Û ji bona ku kes bi wê tirsdanê bêne (hişyarkirinê) û ji bona ku ewan bizanin, hey babetê perestîyê Yezdanê bi tenê ye û ji bona xweyê hiş ji wê şîretan hildin, eva (Qur’ana) bûye (şîreteke) ragehînî.

## Chapter 15 (Sura 15)

1. 1E.L.R. (Hey Yezdan bi arşa van tîpên ji hevçûyî dizane). Evanan, beratên pirtûk û Qur’ana daveger in.
2. 2Gavê werin, ewanê bêne file hene! (Ewanê bêjin:) "Xwezîka em misilman bûna."
3. 3(Muhemmed!) Tu dest ji (tekoşîna bi wan ra) berde. Bira ewan bixun û (bi xweşî) bijîn, xwestinê wan ewan didine para da. Îdî di nêzîk da ewanê bizanin (ka paşîya kirinê wan ça ne?).
4. 4Me çiqa rûniştîyên welatekî teşqele kiribin, hey ji bona teşqela wan, danekî diyarî hebûye. (Ya jî, ji wan hey mayîne nivîsarê diyarî mane).
5. 5Qe tu kom tune ye, ku ji danê (teşqele dane xwe) borîye, ya jî para da mayî be.
6. 6Ewan (filan ji bona te ra aha) gotine: "Bi rastî ewê ku (Qur’an) bi ser te da hatîye hinartinê, tu yekî tepaketî yî."
7. 7"Heke (bira, tu) di doza xwa da rast î, ka (ji bona rastîya pêxemberîya xwe) ji me ra firişteyên (dîdevan) bîne."
8. 8Em hey firiştan (ji bona berewanî û şapatdanê) dihênirin. (Gava firişte werin hinartinê îdî ewanan nikarin) tu tiştî bikin (firişte nahêlin ku ewan çavê xwe vekin).
9. 9Bi rastî me (Qur’an) hinartîye, bi rastî em bi xweber jî ji bona (Qur’anê ra) parisvan in.
10. 10Û bi sond! Di nava wan komên berya te da, me pêxember şandine.
11. 11Çiqa pêxemberek hatibe bal wan, ewan hey bi wî (pêxemberî) tinaz kirine.
12. 12Em bi vî awayî (tinazan) dixine dilê wan ê nûsitemkar.
13. 13Di berya wan da (ewan komalên tinazger) ka me çi bi serê wan da anîbû, borîne (evan şopa wan dibînin jî, disa) bawer nakin.
14. 14Heke me di ezman da ji bona wan ra derîyek vekirî bûya, ku ewan di wî derî da hevraz derketinan jî (ewan beratan bi çavê xwe bidîtanan).
15. 15(Wê dîsa ewanê) bi gotinan: "Bi rastî çavê me sermest bûye, bi rastî em komelekî wusa nin li me anç hatîyekirinê."

16.16Bi sond! Me di ezman da şûnwarê (wekî koşkan) gerandine, me ewan (şûnwaran) ji bona dîdevanan ra xemilandine.
17.17Me ewa (ezmana) ji hemî pelîdên deherok dane parisandinê.
18.18Ji pêştirê wî pelîd ku bi dizî gohdarî dike, îdî pêtên agirê xûyayî dibine peyrewê wî pelîdî.
19.19Û me zemîn jî raxistîye. Me di nava zemîn da çîyayên dirêj rakutan e. Me hemû tişt di zemîn da bi pîvayî hêşîn kirine.
20.20Di zemîn da me ji bona we ra û ji bona wan candarên, ku hûn ji wan ra rozîyan nadin (rozîyên) jînê çê kirine.
21.21Û xezna hemî tiştan hey li bal me ye. Em ewan wekî hewcebûnê hey dihênirin (ji azman û zemîn ji bona jîna we derdixin, wekî ba û barîştan).
22.22Û me ba, bi kevînî şandîye (ewr civandine) îdî em di jor da aveke wusa dihênirin, em we bi vê avê didine avdanê. We bi xweber jî nikarîye ewa ava bixista cûrnan.
23.23Û bi rastî hey em bi tenê ne jîn û mirin çê dikin. (Ûrta wan hemûyan jî) em bi tenê ne. (Piştî wan, hey em bi tenê dimînin).
24.24Bi sond! Ewanê ji we yên ku pêş da çûne, me bi wan zanîye. Û bi sond! Ewanê ji we yên ku para tên em bi wan dizanin.
25.25Û Xudayê te ê (ewan bi rastî we ji bona hijmartina kirinê wan) bicivîne. Bi rastî Xuda bijejkeyê zana ye.
26.26Bi sond! Me meriv ji heryeke ji hev çûyê genîyê qimitî afirandîye.
27.27Hêj di berê da jî me meçêtir ji agirê bayê germok e afirandîye.
28.28Di gavekî da Xudayê te ji bona firiştan ra gotibû: "Bi rastî ezê merivan ji heryekê ji hevçûyî bênketî qimitî biafirînin.
29.29Îdî gava min pêka wî anî û ji canê xwe can berda gewdê wî, heman hûn ji wî ra kunde beherin.
30.30(Ji piştî afirandina wî) hemî firiştan (ji bona wî ra) kunde birin.
31.31Ji pêştirê pelîd; ewî ji bona kundebirinê, xwe da para.
32.32(Yezdan ji bona wî ra) gotîye: "Çi bûye ji te ra pelîd! Ku tu jî bi wanê kundebir ra ne bûyî?"
33.33(Pelîd di bersiva Yezdan da) gotîye: "Ezê ça ji bona wî kesê, ku te ewa ji heryekê bênketî qimitîye ji hevçûyî çê kirîye, kunde biherin?"

34.34(Yezdan ji pelîd ra) gotîye: "Îdî tu ji nava qencîyê min derkebe. Bi rastî tu ji dilovanîya min hatî deherandine."
35.35"Û heya roya xelat û celatan deherandin li ser te ye."
36.36(Pelîd beresiv daye) gotîye: "Xudayê min! Heya roya ku ewanê dîsa rabin (ji bona kirinê xwe bêne xelat û celatkirinê, canê min nestîne) li min mêze bike (ka ez çi bi wan dikim!)"
37.37(Yezdan ji wî ra) dibêje: “Bi rastî ji te ra mecal hate dayînê.”
38.38"Heya wî danê roya diyarî."
39.39(Pelîd ji bona Yezdan ra) dibêje: "Xudayê min! Ji bo ku te ez (bi sedema wan) aziran dime, ezê ji bona wan ra di zemîn da (sikatîyan) bixemilînim û ezê ewan hemûşkan bi azirinim (ewan ji rêya te derxim)."
40.40"Ji pêştirê wan kesên ji wan, ku xurî bendeyên te ne."
41.41(Yezdan ji pelîd ra) gotîye: "(Eva gotina te ye ku tu dibêjî. Ez nikarim bendeyên te yên xurî ji rêya rast derxim." Şixwe ewa) rêya min a rast e."
42.42"Bi rastî li ser wan bendeyên minê xurî tu hêz ji bona te ra tune ye. Ji pêştirê wanê azirî ku bûne peyrewê te."
43.43Bi rastî doj, şûna radawa wan aziryan hemûşkan e.
44.44Ji bona dojê ra heft derî hene. Ji bona her yekî ji wan derîyan, pareke ku ji wan hatîye parkirinê, heye.
45.45(Ewanê ku xwe ji pelîd parisandine) hene! Ewan di bihişt û kanya da nin.
46.46Hûn bi xêlne û bi ewletî bikebine behîştan.
47.47Me dexesîya di singê wan da heyî, rakirîye. Ewan bi biratî li ser textan hemberî hewyane.
48.48Di wura da westandin bi wan nagire, û ewan ji bihiştê jî nayêne derxistine.
49.49(Muhemmed!) Tu ji bendeyên min ra agahdarî bide; "Bi rastî ez baxişgerî dilovîn im."
50.50"Bi rastî şapata min jî şapata dilsoz e!"
51.51(Muhemmed!) Tu ji wan ra agahdarî ji mêvanê Îbrahîm bide.
52.52Gava (ewan mêvanan) ketine bal (Îbrahîm, jê ra aha)gotine: "Selam" (Îbrahîm ji wan ra) gotîye:"Bi rastî em ji we vecinîqîn."
53.53(Ewa mêvanan ji bona Îbrahîm ra) gotine: "Tu ji me veneciniqe, bi rastî (em hatine) te bi kurekî zana didine mizgîndanê."

54.54(Îbrahîm ji wan ra) dibêje: "Ji pişkî kaltî bi min da hatîye, hûnê bi çi îdî mizginî bidine min?"
55.55(Ewan ji Îbrahîm ra) dibêjin: “Em mizgînî didine te bi rastî tu nebe ji wanê bê hêvî.
56.56(Îbrahîm ji wan ra) dibêje: "Ji pêştirê wanê rê derketî tu kes ji dilovanîya Yezdan bê hêvî nabe."
57.57(Ji piştî ku Îbrahîm zanî, ewanê hatî firişte ne; ji wan pirsî) got: "Gelî saîyan! Xwastina we çî ye?"
58.58(Ewan saîyan) gotine: "Em li bal komalekî nûsîtemkar da hatine şandinê."
59.59Ji pêştirê malîyên Lût. Bi rastî emê ewan (malîyên Lût) hemûşkan fereste bikin.
60.60Ji pêştirê jina (Lût) me bi rastî (ewa jinika ji wanê ku di nava teşqalan da dimînin hijmartîye). Bi rastî ewa jinika di teşqele da maye.
61.61Îdî gava ewan saîyan hatine bal malîyên Lût.
62.62(Lût ji wan ra aha) gotîye: "Bi rastî hûn komalekî (wusa ne nîyas in) meriv ji we vediciniqin."
63.63(Ewan saîyan) gotine: "(Hûn ji me netirsin) me ewa (şapata) ku komalê te, di hatina wê da du dil in, ji te ra anîye."
64.64"Û me bi rastî ewa şapata anîye û em di gotina xwe da jî rast in."
65.65Îdî tu di danekî şevê da malîyên xwe derxe rê û tu jî li pey wan da here, bira tu kes ji we para da mêze neke, cîyê hûn hatine fermandanê, ji bona çûna wêderê, herin wura."
66.66Û me (li bal Lût da) pêkanîna vê fermanê niqandîye, "Bi rastî poçika wanê di sibehê da hatibe birînê (qe tu kes ji wan namîne)."
67.67Û rûniştîyên bajar bi hev ra mizgîna (hatina saîyan) didane hev (direvîyan hatibûne bal mêvanan).
68.68(Lût ji bajarîyên xwe ra aha) gotîye: "Bi rastî evan mêvanê min in; hûn min bi wan nehetikînin."
69.69"(Çi dibe!) Ji Yezdan bitirsin, hûn min riswa nekin."
70.70(Bajarîyên Lût jê ra) gotine: "Ma qey me tu ji karê bîyanan ne dabû paradanê (hêj tu têkilê karê wan jî dibî)?"
71.71(Lût ji bona bajarîyan aha) gotîye: "Heke hûnê tiştekî bikin, evan keçên (minê jinê we ne) havanên."

72.72(Lût!) Bi jîna te ewan (komalê te yê file) di mestîya xwe da kor mane.
73.73Îdî di gava roj derketînê da, dengê hêja zemîn bi wan girt.
74.74Îdî me ewan ser û binê hev kirin û me li ser wan da jana bi nav (xwuryê keviran) barand (ya jî di zemînê wan da me agir da hilkirinê, wusa teqya di hundurê xwe da herya xweye wekî agir avête hewa, ewan wekî çurûskê agir bi ser wan da barîne).
75.75Bi rastî (di vî da) ji bona wanê xwe nîyas ra beratên (sodretî) hene.
76.76Û bi rastî ewa (bajarê wan komalê Lût) li ser rêyeke berê da heyî da ne.
77.77Bi rastî ji bona bawergeran ra di vê (bûyerê da) beratên hişhildayî hene.
78.78Û bi rastî hevrîyên (Eyketê) zor cewrkar bûne.
79.79Îdî me ji wan jî tol hildane. Ewan herduk (bajarê Lût û bajarê Eyketîyan li ser rê) li ber çavan xûya ne.
80.80Bi sond! Hevrîyên hicrê (şikeft û keviran) jî (pêxember) dane derewdêrandinê.
81.81Û me ji wan beratên xwe anîne, îdî ewan ji wan beratan rû fetilandine.
82.82Ewan di wan çîyan da ji xwe ra xanî bi ewletî dikolan.
83.83Îdî di danê sibe da dengê (hêja zemîn) bi wan girtîye.
84.84Ewa (xebata wan e, ku ewan di berê da ji bona ewletîya xwe di çîyan da xanî kola bûn) ewan (ji şapatê) nedane parizandinê.
85.85Me ezman û zemîn û tişta nîveka wan da heyî, hey bi mafî afirandîye (ne ji bona ku ewan rêzikê min hilşînin. Ewanê di hemberê te da derdikebin hene! Emê ji wan tolê hildin) wê ewa roya (rabûna hemûtîyê) were, îdî tu bi wan ra bi qencî derbasî bike.
86.86Bi rastî Xudayê te pir afirandok û pir zane ye.
87.87Û bi sond! Me ji zoyan heft parên zo (Fatihe) û bi Qur'ana mezin va, ji te ra anîne.
88.88(Muhemmed!) Tu çavê xwe li bal hinek cotên (ji wan) ku me ewan di cîhanê da (bi zenginî û xweşî dane jînandinê) zoq neke. (Ji bona ku ewan bi te bawer nakin) tu murûz nebe û tu ji bona wanê bawer kirine baskê xwe ber jêr bike (di hemberê wan da mulahîm be).
89.89Û (Muhemmed!) tu ji wan ra bêje: "Bi rastî ez hey (ji bona we ra hişyarekî) tirsdanê ber çavî me."

90.90(Hûn dizanin, heke hûn bawer nekin, wê şapata Yezdanê bi ser we da were) wekî me ça li ser wan (fileyên) parkar da hinartîye.
91.91Ewan (filan in) ku Qur'an parpar kirine (hinekî wê, ku wekî Tewrat û Încîlê ye; litê kirine, ewa para ku wekî Tewrat û Încîlê ne bûye, bi wê bawer ne kirine).
92.92Îdî bi Xudayê te emê ji hemû (keda) wan pirs bikin.
93.93Ka ewan çi ked kiribûn?
94.94Îdî tu ça hatî fermankirinê (bê perwa) ewan wusa pêk bîne û tu rû ji wanê hevrîçêker bifetilîne.
95.95Bi rastî di hemberê wanê bi te tinazan dikin, em besî te ne.
96.96Ewanê (tinazan bi te dikin hene!) ewanan ji Yezdan ra hinek xudayên (xweyê) mayî dixne hevrî. Îdî ewanê di nêzîk da bizanin.
97.97Bi sond! Em dizanin, ku dilê te bi gotinê wan teng dibe.
98.98Îdî tu bi pesindayîna Xudayê xwe, ewî ji kêmasîyan paqij bike û ewanê kunde (ji Xuda ra) dibin hene! Tu bibe ji wan.
99.99Û heya mirina te bê, tu perestîya Xudayê xwe bike.

## Chapter 16 (Sura 16)

1. 1Fermana Yezdan hat! Îdî hûn (ji bona hatina fermanê) lez nekin. Bi rastî (Yezdan ji gotinê wan filan; ku tiştan jê ra dixne hevrî paqij û bilind e.
2. 2Yezdan ji bendeyên xwe, ji kîjanî ra bivê, bi fermana xwe firişte (Cibrîl) bi niqandinê va li ser wan bendeyên xwe dihênirîne, ji bo (ewan pêxemberên bendeyên me, ku merivan hişyar bikin û ji bona wan ra evê gotina min a hanê bêjin): "Ji pêştirê min tu tişte babetê (perestîyê) tune ye, îdî hûn parisaya min bikin.
3. 3Ewê ku ezman û zemîn bi mafî afirandîye heye! Ewa Yezdan e. Ji wî tiştê, ku (ewan filan) jê ra dixne hevrî (paqij) û bilind e.
4. 4(Yezdan) meriv ji dilopeke (ava genokî ye) xwe avîtî afirandîye. Hema (ewa meriva) piştî (gava afirandina xwe da) bûye tekoşîngerekî xwûyayî.
5. 5Û (Yezdan) tariş jî afirandîye. Di wan (tarişan da) ji bona we ra tiştê germê (pêk) tînin hene û pir karên (mayî jî) hene û hûn ji hinekî (wan tarişan jî) dixun.

6. 6Û (hêj) gava (ku hûn ewan tarişan) di sibehê da berdidine çêre û di êvarê da jî (hûn ewan ji çêre) tînin û dadikin, ji bona we ra (xweşî û) rindayî heye.
7. 7Û (ewan tarişan) giranîyên we hildidin dibine bajarên (wusa dûr) heya nîvê canê we derneketa hûn nikar bûn bigihîjtina (wan bajaran). Bi rastî Xudayê we mêhrivanê dilovîn e.
8. 8Ji bona sîyarîya we û xişran; (Yezdan) hesp û hêstir û ker (afirandîye). Û tiştin qe hûn pê nizanin ewa ewan jî diafirîne.
9. 9Ewê rêya xwe (rast dike û bendeyên xwe li bal rêya rast da) tîne, ewa hey Yezdan e. Lê hinek rêyên xaromaro hene hinek meriv di wan da diçin. Heke ewî biva, we hûn hemûşk bianîna rêya rast.
10. 10Ewê av ji ezmanan hinartîye, ewa Yezdan e. Di we avê da ji bona we ra vexurin heye, ji wê avê (gîha û dar û ber jî) çê dibin, hûn (tarişên xwe) bi wan diçêrînin.
11. 11Ji bona we ra bi we avê, çandinî zeytûn û xurme û tirî û ji hemûşk beran hêşîn dike. Ji bona komalê ramankar ra di van kirinan da beratên (hişdarî) hene.
12. 12(Yezdan) ji bona we ra şev û roj û tav û hîv (di xebata ji bona we ra, di rêzekî da) bi sernermî danîye. Sterk jî şixwa di fermana Yezdan da sernerm in. Di van kirinan da ji bona komelê hişmend ra bi rastî beratên mezin hene.
13. 13Û ewî çiqa çandinîyên cure cureyê di zemîn da hene! (Hemû) ji bona xebitandina we ra (amade kirîye). Ji bona wî komalê, ku bîra xwe tînin di van da, beratên (hêca) hene.
14. 14Ji bo ku hûn ji zeryayê goştê nû û şil bixun, ewî zerya di fermana we da amade kirîye, hûn ji wê zeryayê xemilên ku hûn li xwe dikin, derdixin. Tu kelekên mezin dibînî, ku ewan evê ça diqelêşin, diçin! Ji bo ku hûn ji rûmeta wî ji xwe ra rozînan bixwazin û ji bo hêvî heye, ku hûn sipazîya bikin ewî evan kirine.
15. 15Ji bo ku zemin we nehejîne ewî li ser zemîn da çîyayên mezin rakutane. Ji bo ku hûn rêya xwe wunda nekin ewî di zemûn da çem û rû û rê danîne.
16. 16Û (Yezdan) beratên mezin jî (di zemîn da) rakutane. Şixwa ewan bi siterkan jî têne re.
17. 17Îdî qe ew (Yezdanê) ku afirandinê dike, wekî wan (tokelên) ku afirandinê bikin, dibe? Qe hên (bi ponijandin evan) bîra xwe naynin?

18.18Û heke hûn (gelî merivan!) qencîyên Yezdan yên (ku li ser we kirîye yek bi yek) bihijmêrin, hûn ewan deste deste jî nikarin bihijmêrin. Bi rastî Yezdan baxişgerê dilovîn e.
19.19Û hûn çi tiştî veşêrin û ya jî eşkere bikin, hey Yezdan bi wan dizane.
20.20Ewan tiştên ku ewan (filan) ji wan ra perestî dikin hene! Ewan qe tu tiştî naafirînin, hêj ewan bi xweber jî hatine afirandinê.
21.21Ewan (tokelan) mirîne, zindî nînin. Ewan bi danê (rabûna hemûşkî, ji piştê mirinê) bê agah in.
22.22Yezdanê ku (hûn jê ra perestî dikin) heye! Ewa Yezdanekî bi tenê ye. Îdî ewanê ku bi danê para da bawer nakin hene! Dilê wan (filan da) ne bawerî cî daye, ewan bi xweber jî, ji bawerîyê, quretî dikin.
23.23Qe tu zîyan nake! Bi rastî Yezdan bi wan tiştên ku ewan dizî dikin ya jî eşkere dikin dizane. Bi rastî (Yezdan) ji wanê ku xwe qure dikin hez nake.
24.24Gava ji wan tê pirsîne, "Xudayê we çi hinartîye?" (Ewan bersivê didin) û dibjin: "Çîrokên berê hinartîye."
25.25(Aha bersiv dane) ji bo ku ewan hemî gonehên xwe û hinek jî, ji gonehên wanê bê zanîn ji rêya rast derxistine, di roya rabûna hemî da hildin. Hişyar bin! Çiqa barê wan sik e!
26.26Bi sond! ewanê berya wan da jî endeze kiribûn, îdî Yezdan jî xîmê avayê wan ji bin da anî, îdî li ser wan da banê avayan hate xarê. Di wî cîhê ku haja wan pê tune bû, şapat bi wan da hatîye.
27.27Paşê di roya rabûna hemî da (Yezdan ewan hemûşkan) riswa dike û (ji wan ra) dibêje: "Ka ewan hevrîyên min yê, ku we (bi bawergeran ra, di mafê wan da) tekoşîn dikirin,li kêderê ne?" Ewan (firiştan û pêxember û bawergerên) ku ji wan ra ji temtêla (filan) zanîn hatîye, gotine: "Bi rastî riswabûn û sikatî di îro da li ser filan e."
28.28Ewanê ku bi xweber li xwe cewr kirine hene! Gava firişte canê wan disitînin (aha) dibêjin: "Me qe tiştek ji riswabûnê nekirîye, îdî hemî sikatîyan davêjin." (Firişten bersiva wan didin aha) dibêjin: "Gotina we nîne, bi rastî we çi tişta kirîye, Yezdan bi wî rind dizane."
29.29“Îdî hûn di deryê dojê da bikebine dojê, hûn di dojê da her bimînin. Îdî (doj) ji bona quran çiqa sikê şûnan e!”

30.30Ji bona wanê (Yezdan) parizî kiribûne (aha) tê gotinê: "Ji bona we ra, Xudayê we çi hinartîye?" (Ewan bawergeran bersiv dene û) gotin "Qencî (hinartîye)." Ji bona wanê ku di vê cîhanê da qencî kirine, qencî hene. Hêj xanîyê para da (ji bona qecîkaran) qenctir e. Bi rastî xanîyê xudaparizan çiqa qenc e!.

31.31Ewa bihişta ku di bine darê wê da çem dikişin heye! (ewan xudaparizan) dikebine wê, ewa bihişta tijî û amade ye; ji bona wan ra, çi bivên heye. Bi vî awayî Yezdan xudaparizan xelat dike.

32.32Ewanê xudapariz hene! Gava firişte canê wan distînin, bi paqijî distînin. (Firişte) ji wan ra dibêjin: "Selam li ser we bin, bi sedema wan qencîyên we dikiribûne bikebine bihiştê."

33.33(Ewanê file hene!) Hey hêvîya vî dikin: "Gelo wê kengê firiştan werin (canê wan bistînin) ya jî gelo wê kengê fermana Xudayê te yê bi şapatdana wan were." (Ya jî arşa vê beratê aha ne: Ewa ji bona rastîya pêxemberîya pêxemberan, ji pêxemberan ra gotine: "Ka ji bona xwe ra firiştan ji ezmanan bînin; bixne şahidê xwe, ku em jî bi we bawer bikin." Îdî qey ewan filan hêvîya hatina firiştan, ya jî hêvîya hatina şapata Xudayê te dikin, ku bawer nakin?") Bi vî awawî ewanê di berya wan da borine ji, wekî wan kirine. Bi sedema kirinê wan (Yezdan ewan teşqele kirine, bi vê kirinê) Yezdan li wan cewr ne kirîye, lê ewan bi xweber li xwe cewr kirine.

34.34Îdî sikatiya tişta ku ewan kiribûne, bi wan da hatîye, tişta ewan ku (bi hatina wê) tinaz dikiribûne, bi ser wan da hatîye, ewan hildane nava xwe da.

35.35Û ewanê ku ji bona (Yezdan ra) hevrî çê kirine hene! (Bi tinaz aha) gotine: "Heke Yezdan biva, me û bav û bapîrên xwe ji pêştirê wî, ji tu tiştî ra perestî ne dikir û me (bê wî) qe tu tişt ne durist ne dikir." Bi vî awayî ewanê berya wan da borî jî wekî wan dikiribûne. (Tu bi kirinê wan mirûz nebe) qey li ser pêxemberan ji pêştirê gotina vekirî tu tiştek heye?

36.36Û bi sond! Me di nava hemû koman da pêxember şandine, ji bo ku ewan (pêxemberan ji koma xwe ra aha bêjin): “Hûn ji Yezdan ra perestî bikin û hûn xwe ji perestîya pelîd biparisînin.” Îdî ji wê koma (pêxember) hinek hene; Yezdan ewan anîne rêya rast û hinek jî ji wan koman hene:

rêwundabûn li ser wan maf bûye. Îdî hûn mêze bikin! ka encama wanê virek ça bûye?

37.37(Muhemmed!) Heke tu bihewilî, ji bona hatina wan li bal rêya rast da, bi rastî evê ku Yezdan rêya rast li ber wî wunda kiribe, îdî ewa nayê rêya rast, ji bona wan ra, tu arîkar jî tune ye.

38.38Ewan bi sondên xwe yên mezin bi Yezdan sond xwarine; ku Yezdan mirîyan îdî ranake. Bi rastî gotina wan nîne (loma rakirina wan) li ser Yezdan mafek e. Lê pirên kesan pê nizanin.

39.39Ji bo ku ji wan ra, ewa tişta ku ewan têda ne wekhev bûne, bi rastî diyar be û ji bo ku ewanê bûne file hene! Bizanin, ku ewan di berê da vir kiribûne (wê Yezdanê ewan rake).

40.40Bi rastî gava em bivên, ku bûyerek ya jî tiştek bibe, dema em ji wî ra dibêjin, "bibe", îdî ewa heman dibe.

41.41Ewanê ku li wan cewr hatîye kirinê hene! Ku ji bona qayîltîya Yezdan, ji welatê xwe koç kirine: Emê bi rastî ji bona wan ra di cîhanê da qencîyan bikin. Heke ewan bizanin, qencîyên para da hêj meztir in.

42.42(Ewanê li wan hatîye cewrkirinê; ji welatê xwe ji bona qayîlbûna Yezdan derketine) hew dikin hene! Ewan xwe dihêspêrne li ser Xudayê xwe.

43.43Me ewanê di berya te da bi pêxemberî şandine, ewan jî hinek mêr bûne, me li bal van da niqandîye. Îdî heke hûn nizanin, hûn ji zanan bipirsin.

44.44Me (ewan pêxemberan) bi beratên (vekîrî) û bi pirtûka va (şandîye). Me eva Qur’ana li bal te da hinartîye, ji bona ku tu ji bo kesan ra tişta li bal wan da hatîye hinartînê vekî, bi rastî hêvî heye ku ewan raman bikin.

45.45Îdî ewanê ku endezên sik kirine hene! Qey ewan ewle dibin, ku Yezdan ewan di zemîn da nexe xwarê, ya jî ji wan ra şapatan di cîhê qe haja wan tune be, bîne?

46.46Ya jî (dema ku ewan) di kar û xebata xwe da bin, heman şapat bi wan negire (ewle dibin)? Îdî ewan jî nikarin, dema şapat hatibe, bidine para.

47.47Ya jî ewan di tirsa hatina şapatê da bin (heman nişkêva şapat) bi wan negire (ewan ewle dibin)? Îdî bi rastî Xudayê we mêhrivanê dilovîn e.

48.48Ma qey ewan li bal wan tiştên, ku Yezdan afirandine mêze nakin; ka sîha wan ça bi rast û çep xaro maro dibin, ji bona Yezdan ra bi kurt û dirêj kunde dibin?

49. 49Ji revaran; çi ezman û zemîn da hene û firişte hemûşk, ji bona Yezdan ra kunde dibin, qe yek jî qouretî nake.
50. 50Ewanan ji Xudayê ser xwe ditirsin, ewan bi çi têne fermankirinê, hey ewî tiştî dikin.
51. 51Yezdan gotîye: "Hûn du ilaha (ji xwe ra) negirin. Bi rastî Yezdanê (babetê perestîyê) yek Yezdanê bi tenê ye. Îdî hûn hey ji min bitirsin (li bal min da hûnê bi tirs bizivirin)."
52. 52Çi di ezman û zemîn da hene! Hemî ji bona (Yezdan ra ne) û ola rast û perestî hey ji Yezdan bi tenê ra ne. Îdî qey hûn parizaya pêştirê Yezdan dikin?
53. 53Çi qencîyek bi we da were (hûn dibêjin: "eva ji Yezdan e.") Paşê dema nexweşîyek bi we bigire, dîsa hûn li bal Yezdan da zarî dikin.
54. 54Paşê dema, ku ewa nexweşî ji we radibe, destekî ji we di wê gavê da hevrîyan ji Xudayê xwe ra çê dikin.
55. 55Ewan, evan tiştan dikin, ji bo ku (di hemberê van) qencîyên me bi wan kirîye nankorî bikin. Îdî hûn di xweşîya xwe da bimînin. Lê hûnê di nêzîk da bizanin!
56. 56Ewan (filan) ji wan rozîyên ku me daye wan, ji wan (pûtên) ku qe tu tiştî nizanin, par çê kirine. Bi Yezdan! Hûnê bi rastî ji wan virên ku hûn dikin, bêne pirskirinê.
57. 57Û ewan (filan) ji bona Yezdan ra (firişte) xistine (keç). Yezdan ji wan gotinê wan paqij e. (Çiqa sodret e!); tişta ji xwe ra jî dixwazin kur in. (firişte keç in, ewan zarê Yezdan in, lê kur jî ji xwe ra hildane: eva çiqa parkirineke sodret e!).
58. 58Gava yek ji wan bê mizgîndanê: "ku ji te ra keçek bûye," bê gotinê, rûyê wî ji hêrsa reş dibe, bi xweber jî hêrsa xwe diqurtîne.
59. 59Ji bo sikatîya mizgînê ewa xwe ji komal xwe vedişêre. Gelo wê ewa yê, ewê keçikê bi sernegûnî xweyî bike, ya jî wê ewê keçikê di xwelyê da çal bike? (Bêzar dimîne nizane wê çi bike). Hîşyar bin! Tişta ewan berewanî dikin çiqa sik e!
60. 60Ji bona wanê ku bi danê para bawer nakin hecwekîya sikatî heye. Ji bona Yezdan ra jî hecwekîya balatir heye. Yezdan servahatê bijejke ye.

61. 61Û heke Yezdan bi sedema sikatîya kesan, heman bi wan da şapat bianîya; Li ser (zemîn) tu rewar ne diman, lê şapatdana wan, heya danê navdayî para dixe. Îdî gava danê şapatdana wan hatibe, qe ewa dana para û pêra nakebe.
62. 62Tişta rikê wan ji te, ewan ewî dixne (zarê) Yezdan û zimanê wan bi vir salixê çi tiştên rind bide, bi rastî eva ji me ra ne (dibêjin). Qe tu çare tune ye; bi rastî ji bona wan ra agir heye û ewanê di agir da her bimînin.
63. 63Bi Yezdan! Me hêj berya te da li bal gelek koman da pêxember şandibûn. Îdî pelîd kirinê wan (koman) ji bona wan ra xemilandibû (kirinê wan xweşa wan diçû, gotinên pêxemberan ne dikirin) pelîd di îro da jî serkarê wan e, ji bona wan ra şapata dilsoz heye.
64. 64Hey ji bo ku tu ewan tiştên, ku ewan (kesan) têda bi dudilî ne wekhev dibin, vekî (ewan rastîyê bizanin) û ji bo ku ewa (pirtûka) ji bona komalekî bawerger bibe rêber û dilovînekî, me pirtûk li ser te da hinartiye.
65. 65Û Yezdan ji ezman avek hinartîye, îdî ji piştî mirina zemîn, ewî zemîn bi wê avê zindî kirîye. Di vê kirinê da ji bona komalekî bihîstok ra (ku Yezdan ça zemîn ji piştê mirinê zindî kirîye, wusa ji merivan ji piştî mirinê dikare zindî bike) berateyên sodret hene.
66. 66Bi rastî ji bona we ra di (tarişên) mêşînî da tiştên ku meriv jê hiş hildin, hene. Ji tiştên di zikê wan mêşînan da ku di nîveka bişkul û xwûne derdikebin: Bi şîrekî xurî em we av didin, ewa şîra ji bona vexwarya, bi hesanî di qirika wan da diçe xarê.
67. 67Bi rastî di berê darê xurma û rêzan da, ku hûn ji wan (beran) rozîyên qenc (ji xwarin û vexwarinan) û meyê digirin, ji bona komalakî hişdarî dikin, beratên (sodretî) hene.
68. 68Û Xudayê te û bal moza hingiv da (aha) niqandîye: "Tu ji bona xwe ra di çîya û dar û ji wan arzêlên (ku ji daran, meriv çê dikin û diçîkînin) xanîyan bigire."
69. 69"Paşê ji hemî beran bi xwe û bi stûxarî paşê bikebe wan rêyên Xuda yê xwe (derkebe) bigere. Ji zikê wan mozan da aveke rengê wê cure cure derdikebe; ji bona merivan di wî (hingivî da) mefayek heye. Di van kirinan da ji bona komalekî ramanger ra beratên hêja hene.

70.70Yezdan hûn afirandine, paşê ewê canê we disitîne û ji bo ku hûn ji piştî zanînê qe tu tiştî nizanbin, hinekan ji we, Yezdan ewan heya danê xurifandinê dihêle. Bi rastî Yezdan pirzanê bişîye.
71.71Yezdan hinekên ji we, bi ser hinekên we da di rozînîyê da bi paydarî pir kirîye. Îdî ewanê ku para wan pir e, hene: Çi dibe, ku hinekî ji wê rozîyê; ji bona wanê bê par in di binê destê wan da mane, bidin? Loma ewan hemî jî di wê rozînîya heye da, hevpar in. Qey hûn (ji bona vê parkirina Yezdanê, ku rozînîya hinekê we daye destê hinekên ji we; ewan jî di para da rozînîya wanê bindestê xwe bidine wan, qayîl nabin) hûn bi qencîyên Yezdan nankorî dikin?
72.72Û Yezdan ji bona we ra ji canê we zo çê kirine, ji wan zonê we ji bona we ra kur û nevî çê kirine. Û hûn bi paqijê rozîyan dane rozînîkirinê. Îdî qey ewan bi pûçan bawer dikin û bi qencîyên Yezdan jî nankorî dikin?
73.73Û ewan qey ji pêştirê Yezdan, ji bona wan (tokelên) ji ezman û ji zemîn qe bi bu tiştî rozînan ji wan ra kar nakin û nikarin jî kar bikin, perestî dikin?
74.74Îdî hûn ji bona Yezdan ra hecwekîyan çê nekin (ji ber hişê xwe nebêjin: "Ka evan tokelan ji piştî, ku em ji wan ra perestî dikin, ewan jî paşê wekî perestîya me ji Yezdanê mezin ra perestî dikin."). Bi rastî Yezdan (bi hecwekîyan) dizane û lê hûn (bi wan) nizanin.
75.75Ji bona we ra Yezdan evê hecwekîyê çêke; ewê (perestîya pêştirê Yezdan dike) wekî wî bendeyê di binê destan da zebûn mayî, qe nikare tu tiştî bike, ewê (perestîya Yezdan dike) wekî wî bendayê ji binê destan derketî, ku me ji wî ra rozîneke rind dabe, îdî ewa jî bi dizî û eşkere (di rêya min da) bide xwarinê, qe wekî hev dibin? Çiqa pesindan hene! Hemû ji bona Yezdan ra nin. Û lê pirê wan nizanin.
76.76Û Yezdan (ji bona we ra serdaborya) her du mêrikan jî hecwekî kirîye; yek ji wan lal e, qe tu tiştî nikare bike: Hey bûye barekî ketîye stûyê serkarê xwe. Axayê wî ewî kuda dişîne, qe tu karê; qencîyê nake. Evê mêrika, qe wekî wî mêrê ku di rêya rast da diçe, fermana bi dadvanî dike, dibe?
77.77Ne xûya ne di ezman û zemîn da heyî, hemû ji bona Yezdan ra nin. Fermana bi hatina danê rabûna hemûşkî li bal Yezdan, wekî çav girtinekî ye, ya jî hêj nezîktir e. Bi rastî Yezdan li ser hemû tiştan bi hêz e.

78.78Gava Yezdan hûn ji zikê dîya we derxistin, we qe tu tişt nizanbû, ji bona ku bi rastî dibe hûn sipazîya Yezdan bikin ewî ji bona we ra (aletê bîhîstinê û dîtinê û dil) çê kirîye.
79.79Ma qey ewan (filan) li bal wan çûkên hewa ku ji wan ra sernerm bûne, mêze nakin? Ji pêştirê Yezdan tu tişt ewan (çûkan) di jor da nagire. Bi rastî ji bona komalekî bawer dikin, di van kirinan da beratên (mezin) hene.
80.80Û Yezdan ji bona we ra ji xanîyên we êwirgah çê kirîye û ji bona sivikaîya, di roya barkirin û êwrê da, Yezdan ji kelê tarişan ji bona we ra (kon) û xanî çê kirîye. Gava (ewan tarişan têne kêmkirinê) Yezdan ji hirî û tivtik û mûyê wan, ji bona we ra xemil û xwakirin û raxistin çê kirîye; (Hûn ewan dikirin û difiroşin).
81.81Yezdan ji bona we ra ji tiştên ku afirandîye, sîwan çê kirîye û ji bona we ra ji çîyan ewî kozîk afiradîye û ji bona we ra kincên, ku we ji germê û kincên, ku we di qirînan da ji lêxistinan biparisîne çê kirîye. Bi vî awayî ewa qencên xwe li ser we peyweste dike, bi rastî hêvî heye, ku hûn xwe hispêrne wî.
82.82Îdî heke ji piştî van (beratan, ewan filan, ji bawerîyê) rû bifetilînin (ji bona te ra tu xesar tune ye) li ser te hey eva dimîne: Bi xûyayî ragihandina fermanan e."
83.83Ewan qencîyên Yezdan nîyas dikin (paşê dibêjin: "Evan qencîyan hinekên mayî dane," ji wan ra perestî dikin.) Bi vî awayî pirê wan nankorî dikin.
84.84Di wê roya, ku em ji her komê ra şahidan tînin, îdî ji bona wanê file ra destûr nayê dayînê, ku herin lavaya bağişandin yê xwe bikin.
85.85Ewanê cewr kirine hene! Gava ewan şapatê bibînin, îdî şapata wan sivik nabe û firseta wan jî nayê danê.
86.86Gava ewanê hevrîçêker, ewan hevrîyan dibînin (aha) dibêjin: "Xudayê me! Ewan hevrîyên, ku me ji pêştirê te ji wan ra perestî dikir, evanan in (îdî tola xwe ji wan derxe, ewan em xapandibûn," tokelan bersiva wan aha daye): "Bi rastî hûn derewan dikin (qe tu carî me hûn gazî bal perestîya xwe ne kirine)."
87.87Di wê royê da ewan xwe ji bona Yezdan ra dihêspirînin, ewan tiştên ku ewan (filan) ji bona Yezdan ra bi vir dixistne hevrî dest ji wan berdane, wunda bûne.

66.66Mûsa ji bona wî (bendî ra aha) gotibû: "(Destûra te heye) ku ez bibime peyrewê te, ji bo ku tu min hînê wê zanîna, tu hînê wê bûyî, bikî?"
67.67Ewî (ji bona Mûsa ra aha) gotîye: "Bi rastî tu nikarî bi min ra hew bikî."
68.68"Û tuyê ça li ser wan tiştên, ku qe gura te bi wan tune ye hew bikî?"
69.69(Mûsa ji wî ra aha) gotîye: "Bi hezkirina Yezdan, tuyê bibînî, ku ez bi te ra hew dikim û ez (di tu tiştî da) bê gotina te nakim."
70.70Ewî (ji bona Mûsa ra aha) gotîye: "Îdî heke tuyê bibî peyrewê min, gotî tu pirsa tu tiştî ji min nekî heya ez bi xweber ewî tiştî ji te ra bêjim."
71.71Îdî ewan herduk, bi hev ra çûn, heya çûne sîyarê kelekê bûne (ewî bendî rabûye) kelek qul kirîye. (Mûsa ji wî ra aha) gotîye: "Tu çima qul dikî? Wê hemî rêwîyên we, di ave da bifetidin. Bi sond! Eva tiştekî sodret e tu dikî (hemîşka rikê xwe ji me bînin.)"
72.72(Ewî bende î ji Mûsa ra aha) gotîye, "Maqeymin ji te ra negot; ku bi rastî tu nikarî bi min ra hew bikî?"
73.73(Mûsa ji wî bendeyî ra aha) gotîye: "Min bibaxşîne, bi sedemê bîrvakirin a min li min sîtem neke, ji bona vekirina min tu ji min ra zoritî dernexe."
74.74Îdî ewan herduk bi hev ra çûn, heya çûne rastê zareke kurîn hatine (ewî bendeyî rabûye) kurik kuştîye. (Mûsa ji wî bendeyî ra aha) gotîye: "Te çima ewa zaroka paqij a bê gur û goman kuşt? Qe tu tola te li ser wî tune bû. Bi sond! Te tiştekî wusa kirîye; wekî wî sik tune ye."
75.75(Ewî bende ji Mûsa ra aha gotîye): "Ma qey min ji te ra ne got, bi rastî tu nikarî bi min ra hew bikî?
76.76(Mûsa ji bona wî bendeyî ra aha) gotîye: "Heke ez ji piştî vî, pirsa tiştekî ji te bikim, îdî tu bi min ra hevaltîyê neke. Bi sond! Kirinên min li bal te gehiştîne baxişandina dawîyê."
77.77Îdî ewan herduk bi hev ra çûne, heya gava hatine wî gundê ku wan herdukan, ji komalê wî gundî, xwarin xastine. Ewan gundîyan, ji bona wan herdukan jî xwarin ne dane. Ewan (di nava gund da geryan) heya çûn, rastî dîwarekî wusa hatin, nezîk bû, ku hilşîya. (Ewî bendeyî va) ku ewî diwarî rast bike, îdî xebitî rast kir. (Mûsa ji bona wî ra aha) gotîye: "Heke te ji bona çêkirina dîwar, kirya xwe bistanda çêtir ne dibû (ku me jî bi wî ji xwe ra xarin, ji wan bikirya)?"

78. 78(Ewî bendeyî, ji bona Mûsa ra aha) gotîye: "Îdî ewa sedema raqetandina min û te ye. Ezê ji bona te ra sedemên wan tiştê ku te li ser wan hew ne dikir, pirsa wan ji min dikir, bêjim:"
79. 79“Kelek, malê hinek belengazan bû, ewan di avşînê da dixebitînin, di berya wan da serokekî pir zor hebû, bi zorê hemî kelek ji xweyê wan distandin. Min jî rabû kelek qul kir, ji bo (ku ewa serok qula wê kelekê bibîne, îdî kêrê wî nayê keleka wan berde.)"
80. 80"Zarok jî kurê da û bavekî bawerger bû, îdî em tirsîyan (dema ewa zaroka mezin bibe) wî da û bave xwe, ji hezkirina ku ewan ji wî hez kirine, bi quretî bixe file."
81. 81"Îdî me jî va, ku Xudayê wan her du; da û bavan, di şûna wî kurikî da, zarekî qenctir û dilovantir û paqijtir bide wan.”
82. 82"Dîwar, malê du zarên sêwî yên di bajar da bûn, di binê wî dîwarî da, xezîneke wan her du sêwîyan hebû, bavê wan herdukan jî aştîkar bû, îdî Xudayê te va ye (ku ez dîwarê wan rast bikim, ku hilneşe) heya ewan herduk zar bigihêjne sedra xwe, paşê xezîna xwa derxin. Eva dilovanîyeke ji Xudayê te ye bi wan kiriye. Min evan ji ber xwa ne kirine. Sedema wan tiştên me kirî eva ye, te jî li ser kirina wan hew ne dikir (tim dipirsî).
83. 83(Muhemmed!) Ewan (kesan) ji te pirsa xweyê du qoçan (Zulqerneyn) dikin. Tu (beresiva wan aha) bide: "Ezê ji bona we ra, ji serdaborya wî hinek axiftina bixûnim.
84. 84Me ji bona wî ra di zemîn da şûneke bi hêze parizvan çê kirîye û di wura da ça bivê wekî xwestina xwe xebat dike, ji bo ku bigihêje armanca xwe, me ji hemû tiştan sedem û rêyên wan, daye (Zulqerneyn).
85. 85Îdî ewî jî (ji bo ku bigiheje rojava, ji xwe ra) rêyek girt (çû).
86. 86Heya çûye gehîştîye (şûna) ku roj têda diçe ava.Dêna xwe daye, ku roj di kanîyeke herya reş da diçe ava. Di wêderê da rastî komalekî hat, me ji bona (Zulqerneyn ra aha) got: "Zulqerneyn! Tuyê ya ewan şapat bikî, ya jî tuyê bi wan ra qencîyan bikî (ewan bi xweşî bînî rêya rast)."
87. 87(Zulqerneyn aha) gotîye: "Kî cewr kiribe, emê ewî şapat bikin, paşê ewî li bal Xudayê xwe da bê zivirandin, îdî Xuda ê ewî wusa şapat bike, ku wekî wî şapat ne hatibe ditin."

88.88"Lê kîjanî bawer kiribe û karê aştî kiribe, îdî ji bona wî ra jî qencê qencîyan heye û emê ji bona wî ra ji fermanên xwe yê hêsanî bêjin: "(Bira ewa tişta hêsanî bike, tiştê zor neke)."
89.89Paşê rêyeke mayî ji xwe ra girt (çû, ji bo ku bigêhêje armanca xwa ya vî alî).
90.90(Çûye) heya gehîştîye (şûna), ku roj jê derdikebe, rastî komalekî hat, roj li ser wan derdiket. Me ji bona wê komal ra jî bo ku xwe ji rojê biparisînin qe tu perdek çê ne kiribû.
91.91(Seroktîya Zulqerneyn wusa bû; ça biva, wusa dikir, wusa zana bû, rêya her tiştî dizanîya) Bi sond! Me zanîna wî hilda bû binê hêza xwe.
92.92Paşê jî ketîye rêyekî (çûye).
93.93Heya çûye gîhîştîye (şûna) her du bendan. Di rûbarî van her du bendan da rastî komalekî wusa hat, ku nikaribûne bi pisporî mijûlîya wan ji hev deerxin.
94.94Ewî komelê (ji bona Zulqerneyn ra aha) gotine: "Zulqerneyn! Bi rastî komalê (bi nav) "yecûc û mecûc" zemîn wêran kirine. Gelo çi dibe? Ku em kirya te bidin, tu di nîveka me û wan da bendekî çê bikî?"
95.95(Zulqerneyn ji wan ra) gotîye: "Ew mal û milkê ku Xudayê min ez xistime navê ji wî (kirya ku hûn bidine min) çêtir e. Îdî hûn bi hêza (gevdê xwe) ji min ra arîkarî bikin, ku ez di nîveka we û wan da bendeke derabî çê kim.”
96.96“Hûn ji min ra kursîyê hesin bînin." (Dema ewan kursîyê hesin anîn, Zulqerneyn di nîveka wan her du sermilê çîyan tijî kir) heya gava her du sermil bûne wekî hev, yek man. (Zulqerneyn ji wan ra) gotîye: "Hûn pufî (agir bikin, bira agjr pêkebe." Dema agir pêket) heya hesin sor bûye (bû wekî) agir maye. (Zulqerneyn ji wan ra) gotîye: "Hûn ji min ra sifrê biha (helya) bînin: (Dema ewan, ewa sifra ji Zulqerneyn ra anîne, Zulqerneyn ewa sifra) li ser wî hesinî sor da kirîye.
97.97Ewa (bende wusa zexm bû) îdî (yecûc û mecûcan) nikaribûne derkebine ser bende û nikarbûne ku qul bikin jî derkebin.
98.98(Zulqerneyn aha) gotîye: "Eva (çêkirina vê bendê) dilovanîyeke ji Xudayê min e. Îdî heya gava peymana Xudayê min (bi hilşandina) we hat; Xudayê min ê ewê bi zemîn va bixe yek; wêran bike. Bi rastî peymana Xudayê min maf e.

99.99Me kesên (cîhanê) di nava hev da hîştine, di wê gavê da ewan wekî pêlê deryayê di nava hev da pêl didin (ser binê hev da derbas dibin), îdî (dema ku em ewan bicivînin) di sturî da, tê pufdanê em ewan wusa dicivînin qe yekî ji wan nahêlin.

100. 100Em ji bona filan ra, di wê royê da dojê bi xûyayî vedikin.

101. 101Ewan filan ew kes in: ku çavê wan ji bîranîna min, bi perde ye û ewan nikarin gohdarya (Qur’anê jî) bikin.

102. 102Qey ewanê ku bûne file goman dikin, ku ewan ji bal min, ji xwe ra heke ji bendeyên nûn serkaran bigirin (wê ji wan ra kêr hatibin)? Bi rastî me ji bona filan ra doj bi êwirgahî amade kirîye.

103. 103(Muhemmed! Tu ji bona wan ra aha) bêje: "Hûn hez dikin, ku ez ji bona we ra ewanê, ku keda xwe (di para da pir) zîyan kirine, ka kî ne, bê-jim?"

104. 104"Ewanan; (evê bi van salixan, têne nîyaskirinê ne) ku di jîna cîhanê da çi kirine, hemî wunda bûye loma tişta dikirin, goman kiribûne, ku ewan pêşeyên qenc kiribûne."

105. 105"Ewanan; cw fileyên, ku bi berate û bi rasthatina Xudayê xwe (di roya para da) bawer nakin, îdî keda wan hemû şewitîye. Em ji bona wan ra di roya rabûna hemû da, tu kêşê nadine çikandinê (ji bo ku keda wan bê kişandine."

106. 106Bi sedema, ku ewan berate û pêxemberê min, di nava xwe da bi tinaz girtibûne celata ne bawerî û filetîya wan doj e.

107. 107Bi rastî ji bona wanê, ku bawer kirine û karê aştî kirine, bihişta rezan bûye êvirgah.

108. 108Ewanan di wê bihiştê da her dimînin,qe naxwazin ji wura derkebin.

109. 109(Muhemmed! Tu ji wan ra aha) bêje: "Heke zerya bibe hubur, ji bo, ku peyvên Xudayê min, pê bêne nivîsandinê, wê dawya avşînê were, hêj dawya peyvên ( Xudayê min nayê. Heke em wekî wê avşînê jî di arîkarya wê da bînin (wê dîsa dawya wê jî were).

110. 110(Muhemmed! Tu) bêje: "Ez jî merivekî wekî we me; li bal min da hatîye niqandinê, ku Xudayê we yekî bi tenê ye. Îdî kî dixwaze, ku (bi rûkî

rûsipî) here rastî Xudayê xwe be, bira karekî aştî bike û bira di perestîya Xudayê xwe da, tu kesî nexe hevpar.

## Chapter 19 (Sura 19)

1. 1K.H.Y.A.S. (Arşa van têpên ji hev çûyî, hey Yezdan dizane).
2. 2(Evan beratên ku em ji te ra dixunin) dilovanîya Xuda yê te ye, ji bona bîranîna bendeyê xwe; Zekerîya (hinartîye).
3. 3Di gavekî da (Zekerîya) bi dengekî dizî va, gazî Xudayê xwe kirîbûye.
4. 4(Aha) gotîbûye: "Xudayê min! Bi rastî îdî hêstîye min (ji kalbûnê bi jarîtî) sist bûne û serê min jî ji kalîtîyê pê girtîye (sipî bûye). Xudayê min! Min çiqa gazî te kirîye, ez bê hêvî ne bûme (hey te bersiva min daye)."
5. 5"Xuda! Bi rastî ez ji wan (pismamên xwe yê, ku ji piştî mirina min tiştên ne pak bikin). Ditirsim û (tu dizanî) jina min jî eremûk e (çi dibe!) ku tu li bal xwe da, ji bona min ra ûrtekî bidî."
6. 6"Ji bo ku ewa ji min ra û ji malîyên Y'eqûb ra jî bibe ûrt (bimîne). (Xudayê min!) tu ewî bixe yekî wusa, ku tu bi wî qayîl bibî."
7. 7(Yezdan ji bona Zekerîya ra aha qotîye:) "Zekerîya! Bi rastî emê te bi kurekî bi nav Yehya bidine mizgîndanê, me ev navê hanê di pêşya wî da, qe li tu kesekî ne kiribû."
8. 8(Zekerîya) gotîye: "Xudayê min! Ka we ça ji min ra kur bibe? Jina min eremûk e, ez bi xweber jî wusa kal bûme temarê min îdî hişk bûne."
9. 9(Xuda) gotîye: "Gotina te ye, 1ê eva afirandina hanê li ser Xudayê te hêsanî ye, hêj berê da, tu jî tiştek ne bûye, min tu afirandî."
10. 10(Zekerîya) gotîye: "Xudayê min! Ka ji min ra beratekî bide (ku ez bizanibim tuyê ji min ra kurekî bidî." Xuda ji Zekerîya ra) gotîye: "Berata te ev e: Heya sê ro û şevan, hemî gewdê te jî dirust be, tu nikarî bi tu kesekî ra mijûl bibî."
11. 11Îdî (Zekerîya) ji baboyê (mihrabê) derkete nava komalê xwe (nikarbû bi wan ra mijûl bibe, bi hinek nîşana ve ji wan ra aha) gotîye: "Hûn di sibeh û evaran da ji Xudayê xwe ra nimêj bikin û ewî ji kemasîyan paqij bikin."

12.12(Îdî dema ewa zaroka bû, navê wî Yehya danîn. Me ji wî ra aha got): "Yehya! Tu pirtûkê bi hêz bigire (ewê ça ferman kirîye, wusa bike)." Bi rastî Yehya hêj zar bû, me ji wî ra zanîna retkokî dabû.
13.13(Çima me ji wî ra dema zaroktîyê da zanîn dabû), loma Yehya li bal me delal û paqij bû. îdî ewa xudapariz bû.
14.14(Loma Yehya) ji bona dê û bavê xwe ra jî qencîkar bûye û ewa yekê pozbilindê, serhişkê, qure ne bûye.
15.15Di roya ji dayîk bûye û di roya dimire û di roya wê bi zindî rabe here civînê da, selam li ser wî be.
16.16(Muhemmed!) Tu di pirtûkû da (serdaborya) Meryemê jî bixune. Kanê, gava ewa ji malîyên xwe raqetîyabû li alîyê rojhilat ji bona xwe ra şûnek girtibû (qe li malîyên xwe mêze ne dikir, xurî perestî dikir).
17.17Îdî ewê di nava xwe û malîyên xwe da perdek vegirtibû (qe tevê wan ne dibû). Îdî me jî canê xwe li bal Meryemê da şandşye. Ewa cana ji bona Meryemê ra bûye wekî merivekî bê kemasî xwe daye nîşanê wê.
18.18(Gava Meryemê ewa meriva dît, aha jê ra) gotîye : "Ez ji te (ditirsim) xwe davejime ber bextê Xudayê dilovan, ku min ji te biparizîne. Heke tu bi rastî xudaparis î (têkilê min nebe.)"
19.19(Ewî rûhê, ku ketîye diliqê merivan, ji Meryemê ra aha) gotîye: "Bi rastî hey ez saîyê Xudayê te me (hatime vira) ji bo ku ez ji bona te ra kurekî tîtalê zêhirdar bidim."
20.20(Meryemê bersiva wî daye, aha) gotîye: Qe tu meriv têkilê min ne bûye û ez bi xweber jî ez jinekî xirab jî ne bûme, wê ça ji bona min ra kurekî çê bibe?
21.21(Ewî bersiva Meryemê daye, aha) gotîye: "Gotina te rast e. Lê Xudayê te gotîye: Bi van salixan va jî (dayîna kurekî li ser me hêsanîye;" (Emê ewî aha bidin); ji bo ku em ewî bixne berateke derhoze (mucize) ji bona kesan ra bihêlin (Eva dayîna) dilovanîyeke ji me ye." Îdî bûyer (hadise) pêk hat.
22.22(Meryem) îdî bi wê zarê bi zar maye. Ji ber vî qasî (Meryem, ji kemalê xwe) çûye cîyekî dûr maye.
23.23(Dema gava razana wê hatîye) sancîyan bi wê girtîye, ewa çûye nava darê xurman, xwe bi çiqilê daran girtîye (aha) gotîye: "Xwazîka ez hêj berya naha da mirî bûma û hatibûma bîrvakirinê (min evan tiştan ne dîtibûyan)."

24.24Îdî gazî (Meryemê) kirine (aha) gotine: "Tu mirûzê xwe neke, bi sond! Xudayê te dibinê (nigê) te da nijdewanekî mezin çê kirîye."
25.25"Tu çiqlê darê xurman li bal xwe da bihejîne, ji bo ku li ser te da xurmên terê gihîjtî bikebin."
26.26"Îdî tu bixwe û vexwe û tu çave xwe ji hêstiran zaha bike (çavê te ronahî be). Heke tu ji merivan, kesekî bibînî, tu ji wî ra (aha) bêje: "Bi rastî min peyman daye, ku ez ji bona Xudayê dilovan ra rojî bigirim; îdî di îro da qe bi tu kesekî ra mujûl nabim."
27.27Îdî paşê (Meryemê zara) xwe hildaye hatîye bal komalê xwe. (Komalê Meryemê jê ra aha) gotine: "Meryem! Bi sond te tiştekî sodret anîye û kiriye."
28.28"Xûşka Harûn! Bi rastî bavê te merivekî xirab ne bû û dîya te jî jinekî pîs ne bû."
29.29"(Ka te eva ji kêdere anîye?) Îdî (Meryemê) li bal wî zarê da niqandîye (Gotîye: "Ji wî pirs bikin.)" Ewan (bersiva Meryemê dane, aha) gotine: "Ka ewa zaroka hêlanê da, wê ça bi me ra axiftin bike?"
30.30Ewê zarokê (bersiva wan daye û) gotîye: "Bi rastî ez bendeyê Yezdan im; ewî ji min ra pirtûk anîye daye min û ez ji xwe ra xistime pêxember."
31.31"Û ewî ez li hemû cîhî bi payetî rakutame û li min şîret kirîye, heya ez bijîm gotîye ez nimêj bikim û baca xwe bidim."
32.32"Ji bona dîya xwe ra jî qencîkar bim. (Yezdan) ez ji serhişkê pozbilind yê rêderketî ne gerandime."
33.33(Ji Yezdan) di roya ji dayîkbûna min da û di roya mirina min da û di roya ku ezê bi zindî rabim (herime civînê) da, selam li ser min heye.
34.34Rastîya wî ‘Îsayê kur ê Meryemê ku hûn di rastîya wî da dudil in, eva ye.
35.35Qe babet nîne, ku Yezdan ji xwe ra zaran bigire, ewa ji van (gotinan) paqij e. Gava (Yezdan) bivê ku bûyerekî çê bike, ji wê bûyerê ra dibêje: "Bibe." Ewa jî ji ber xwe dibe.
36.36Bi rastî Yezdan Xudayê min e û Xudayê we ye jî. Îdî hûn hey ji wî ra perestî bikin. Rêya rast hey eva ye.
37.37Îdî (paşê ewan di nava xwe da partî çê kirine). Ewan partîyan di nava xwe da ne wekhev bûn çê kirine. Îdî ji dîtina roya mezin (ku roya rabûna hemû ye) xwelî li wan filan be (ka ewan ça fereste bin?).

38.38Di roya ku ewan têne bal me, çiqa rind dibêhin û çiqa rind dibînin! Lê ewanê cewr kirine hene! Ewan di wê royê da di wundabûneke xûya da nin.
39.39Û (Muhanmed!) tu ewan ji wê roya, ku hemû bûyer têda têne pêkanînê, meriv li ser kirinê xwe kovanan dikişînin, bide hişyarkidrinê. (Gava bûyera wan pêk tê) haja wan namîne, ewan bi xweber jî bawer nakin.
40.40Bi rastî hey ûrta zemîn û tişta li ser (zemîn) em tenê ne. Ewan hey li bal me da bine zivirandinê.
41.41(Muhemmed!) Tu di pirtûkê da (serdaborya) Îbrahîm (ji bona koma xwe ra) bixûne. Bi rastî (Îbrahîm) pêxemberekî pir rast bûye.
42.42Di gavekî da (Îbrahîm) ji bona bavê xwe ra (aha) gotîye: "Bavo! Ka ji bo çi tu ji wan tiştên, ku nabihên û nabînin, perestî dikî? Ewan qe te (ji tu şapatî jî) fereste nakin."
43.43"Bavo! Bi sond, ji bona min ra zanîneke wusa hatîye, ku ewa zanîna ji te ra ne hatîye, îdî tu bibe peyrewê min, ku ez te beherime wê rêya rast ya bê kêmasî."
44.44"Bavo! Ji bona pelîd ra perestî neke. Bi rastî pelîd li ber Xudayê dilovan da serî bilind kirîye (bi gotina wî nake.)"
45.45"Bavo! Bi rastî ez ditirsim, heke şapatek ji Xudayê dilovan bi te bigire, îdî tu jî bibî dostê pelîd."
46.46(Bavê Îbrahîm bersiva wî daye aha) gotîye: "Îbrahîm! Qey tu ji perestîya Xudayên min, rû difetilînî (perestîya wan nekî)? Bi sond! Heke tu ji wan kirinê xwe dest bernedî ezê te kevir bikim (bikujim) û (Îbrahîm) tu dest ji min berde, heya hinek gavan ji vira here."
47.47(Îbrahîm bersiva bavê xwe aha daye), gotîye: "(Bavo!) selam li ser te be, ezê ji bona te ra ji Xudayê xwe, lavaya baxişandinê bikim. Loma Xudayê min, ji bona min ra pir qencîkar e."
48.48"Bi rastî ezê ji we û ji wan tiştên, ku hûn ji pêştirê Yezdan, ji wan ra perestî dikin dest berdim, ezê hey ji Xudayê xwe ra perestî bikim. Goman dikim, ku ez jî (wekî we) bi perestîya Xudayê xwe dil hişk û rê derketî nebim."
49.49Îdî gava (Îbrahîm) dest ji wan û ji pêştirê Yezdan, ji wan ra perestî dikirin, berdaye, me jî ji bona (Îbrahîm ra) Ishaq û Y’eqûb raber kiriye. Me hemûşk jî xistibûne pêxember.

50.50Me ji dilovanîya xwe, ji bona wan ra (mal, hêz û serwet) daye, me ji bona wan ra zimanekî rastê bilind daye.
51.51Û (Muhemmed!) tu di pirtûkê da (serdaborya) Mûsa (ji bona koma xwe ra) bixûne. Bi rastî (Mûsa bendekî me ye) xwurî bûye, ewa bi pêxemberî (li bal zarên cihûyan da) hatîye şandinê.
52.52Me ji alîyê rastê çîya yê (bi nav) Tûr da, gazî (Mûsa) kirîye. Ji bo ku em bi wî ra mijûl bibin, me ewa nêzê xwe kirîye.
53.53Me ji dilovanîya xwe, ji bona (Mûsa ra) birayê wî yê Harûn bi pêxemberî raber kirîye.
54.54(Muhemmed!) Tu di pirtûkê da (serdaborya) Îsma’îl (ji bona komalê xwe ra) bixûne; Bi rastî ewa di peymana xwe da rast bûye. Ewa (li bal komalê xwe da) bi pêxemberî hatîye şandinê.
55.55(Îsma’îl) fermana malîyên xwe bi nimêjkirinê û bi baca malê xwe dayînê kirîye. Ewa li bal Xudayê xwe jî, hatîye qayîlkirinê.
56.56(Muhemmed!) Tu di pirtûkê da (serdaborya) Îdrîs (ji bona komalê xwe ra) bixûne. Loma bi rastî (Îdrîs) pêxemberekî pir rast bûye.
57.57Me jî ewa li bal cîyekî bilind da rakirîye.
58.58Evan (pêxemberên, ku navê wan borîne) hene! Ji nişa (Adem) û ji nişa wan kesên, ku me ewan bi Nûh ra hildabûne (kelekê) û ji nişa Îbrahim û Israîl (Y’eqûb) in. Me ji wan ra, rê daye nîşanê û me ewan (di nava kesan da bi pêxemberî) hilbijartîne. Gava beratên Yezdanê dilovan ji wan ra tê xwendinê ji xwe va diçin, bi giryanê ve diçin secdê.
59.59Îdî li pey wan (pêxemberan) ûrteke wusa maye, ewê ûrtê dest ji nimêjkirinê berdane, bûne peyrewê dilxwezîya xwe (haja wan ji fermanên me ne maye. Evanê jî celata qûretîya xwe bibînin). Wê li bal dojê da bêne avêtinê.
60.60Ji peştirê wanê, ku ji kirinê xwe poşman bibin û karê aştî kiribin, evanan dikebine bihiştê, qe bi tu tiştî cewr li wan nayê kirinê.
61.61Ewa (bihişta) bihişteke wusa ne (Yezdan)ê dilovan bi ne xûyayî ji bona bendeyên xwe ra peyman daye (ku wê ewanê bikebine wê bihiştê). Bi rastî peymana (Xudayê dilovan) tê şûna xwe.

62. 62Ewanan (di bihiştê da) hey rastê vê peyvên "Selam" tên, qe peyvên kajî vajî têda tune ne. Ji bona wan ra di sibeh û evaran da xwarinên wan di bihiştê da hene (ewan jê dixun).
63. 63Ewa bihişta hanê heye! Ji bendeyên me, kîjanê xudaparizî dike, em ewî dixine mîratxwarê wê bihiştê.
64. 64(Dema niqandin, çend royan para ket, pêxember ji Cebraîl pirsîye: “Ka çima niqandin para ketîye?" Cebraîl bersiva wî daye, aha gotiye): "Em hey bi fermana Xudayê te têne hiartinê, çi di berya me da borîye û çi di pey me da maye, û di niveka van her du deman da jî çi heye, hemî ji bona Xudayê te ra ne (çi ferman bike wilo dibe). Şixwa Xudayê te (tu jî) bîrva ne kirîye.
65. 65"Xudayê ezman û zemîn û Xudayê tiştên di nîveka wan herdukan da heye, ewa ye. Îdî tu ji bona wî (Xuda ra) perestî bike û tu ji bona perestîya wî ra binive. Qe tu bi navê yekî (ku bi navê Yezdan hatibe navdanê) dizanî?"
66. 66Meriv (aha) dibêje: "Gava ez mirim, dîsa ezê di nêzîk da zindî (ji gorê) derkebim?"
67. 67Qey meriv bîra xwe naynin, me ewan afirandin, qe ewan di berê da tu tişt nebûn?
68. 68Bi Xudayê te! Emê ewan û pelîdan bi hev ra bicivînin, paşê emê ewan li dora dojê li ser çokan amade bikin.
69. 69Paşê ji hemî koman, ka kîjan e di hemberê (Yezdan)ê dilovan da, bi curet û serbilind e, emê di nava wan da rakin.
70. 70Şîxwa paşê em bi xweber jî çêtir dizanin ka li bal dojê da kîjan babet e, ku bê avêtinê.
71. 71Di nava we da yekê neçe dojê tune ye (hemûşk jî herine dojê). Eva ketina dojê li ser Xudayê te fermanek e, pêk hatîye.
72. 72Paşê emê ewanê xudaparizî kirine hene! Ewan ji dojê fereste bikin, emê ewanê cewr kiribûne jî di dojê da li ser çokan bihêlin.
73. 73Gava beratên me yên daveker ji bona wan ra têne xwendinê, ewanê bûne file hene! Ji bona wanên bawerger ra (aha) dibêjin: "(Ka hûn gelî bawergeran! Mêze bikin) ji van her du destan, cîyê kîjan yê çêtir e, kîjan qenctir e (ku meriv ji xwe ra bixe heval)?"

74.74Me çiqa welatîyên, ku hêj ji van bi mal û temtêla xwe va pir rindtir bûne, teşqele kirine, di berya wan da borîne. (Tu dibe qe evan bi teşqela wan nizanin?)

75.75(Muhemmed! Tu ji wan ra aha) bêje: "Kî rêya xwe wunda kiribe, heke Yezdanê dilovan heya hinek deman (mal û zar û fırsend) bide wî, çi jê derdikebe? Loma heya gavê peymanê ji bona wan ra tê, ewan ji van her du tiştan, yekê dibînin: Ya celata wan (bi destê bawergeran di vê cîhanê da ne) ya jî di roya rabûna hemî da (doj bi xweber e.)" Îdî ewanê di wan gavan da bizanin, ka şûna kî, sikê şûna ne û ka bi leşkerî, kê bêvece.

76.76Ewanê hatine rêya rast hene! Yezdan beledîya wan hêj pirtir dike. Ewan karên aştikarî para da mayî hene! Ewan li bal Xudayê te, qencê karan e û (evan karê, ka para da ji bona xweyê wan ra tê dayînê) qencê wan e jî.

77.77(Muhemmed!) Qe tu evê, ku bi beratên me bûye file (aha) dibêje: "We (di roya rabûna hemî da) mal û zarê ji min ra bêne danê (ezê jîwê gavê mafê teyê li bal min heye bidime te”) nabînî?.

78.78Gelo ewa bi nexûyanan (dizane, çûye ewan dîtine) ya jî ji Yezdanê dilovan peyman sitandîye (ku we ji wî ra mal û zarê bêne dayînê)?.

79.79Gotina wî nîne (ewa xapîyaye) ew tişta ku ewa dibêje, emê ewî binivîsin, emê şapatê ji bona wî ra bi dirêjayî dirêj bikin.

80.80Emê bibine ûrta wan gotinê wî (mal û zaran ji wî bistînin) ewê bi serê xwe, bi tenê were bal me.

81.81Ji bona ku bibine piştevanê wan, ewan ji xwe ra pêştirê Yezdanê (babetê perestîyê) hinek ilah girtine.

82.82Wekî gotina wan nîne! Ewan (ilahên, ku ewan ji xwe ra girtine) wê nankorya perestî ya wan bikin û wê ji wan ra bibine dij.

83.83(Muhemmed!) ma qey tu nabînî? Ku bi rastî me pelîdên (wusa) li ser filan da şandine, ji bo ku helanê bi gonehkarî bidine wan, ewan jî gonehan bikin.

84.84Îdî tu ji bona (şapatdana wan) lez neke, loma em ji bona wan ra danê (şapata) wan dihijmirin.

85.85Di roya (rabûna da) em xudaparizan, deste û deste li bal (Yezdan)ê dilovan da dicivînin.

86.86Û em gonehkaran jî li bal dojê da bi xurakandin dajon (ça tariş li bal xwê avê da dixurukin)

87. 87Ji pêştirê wanê ku li bal (Yezdan)ê dilovan, peymana mehderyê hildane, tu kes nikare mehderî bike.
88. 88Ewan (filan aha) gotibûne: "(Yezdan)ê dilovan ji xwe ra zar girtine."
89. 89Bi sond! We curetekî pir sik anîye.
90. 90(Wusa sik e) hindik maye, ku ezman ji wê (gotina we) biçire û zemîn bidire û çîyan jî biherifin.
91. 91Ji ber ku we doz kiriye û (gotîye): "Ji bona (Yezdanê dilovan ra zar hene."
92. 92Babet nîne ji bona (Yezdan)ê dilovan ra, ku ji xwe ra zaran bigire.
93. 93Şixwa çi tiştên di ezman û zemîn da hene! Hemûşk jî li bal (Yezdan)ê dilovan ra bi bendetî tên.
94. 94Bi sond! (Yezdan ewan hemîşk jî) hildane binê hêz ya xwe, ji hijmara wan ra paşî hatîye.
95. 95Ewan hemûşkê jî di roya rabûna hemû da (li bal Yezdan da) wê bi kitayî werin.
96. 96Bi rastî ewanê bawer kirine û karê aştî kirine hene! Wê (Yezdan )ê dilovan ji bona wan ra hezkirinekî çê bike (her kesê ji wan hez bikin).
97. 97Îdî ewa (Qur'an)a bi zimanê te (hinartîye) hêsanî kirîye, ji bo, ku bi wê (Qur'an)ê xudaparizan bidî mizgîndanê (ewanê felat bibin) û tu ewî komalê leçker jî (bi hatina şapatan) bidî tirsandinê.
98. 98Me di berya wan da çiqa (komalên) çaxan teşqele kirine! Gelo qe tu ji yekê ji wan pêjnê hildidî, ya jî qe ji wan dengan dibihîsî?.

## Chapter 20 (Sura 20)

1. 1T.H. (Arşa van tîpên ji hevçûî her Yezdan dizane).
2. 2(Muhemmed!) Me Qur'an li ser te da ne hinartîye, ji bo ku tu bi wê (Qur'an)ê cefa bikişinî;
3. 3Lê me (ewa Qur'ana hinartîye ku xurî ji bo (xuda) tirsan bibe bîranînekî.
4. 4Ewa (Qur'ana ji wî Xudayê) ku zemîn û ezmana bilind afirandî (hêdî hêdî) hatîye hinartinê.
5. 5(Yezdan)ê dilovan, arş (wate) hildaye binê hêza xwe.
6. 6Çi tiştê di ezman û zemîn da heye û tiştê di nîveka wan herdukan da jî heye û tiştê di nava xunava xwelyê da heye jî, hemî ji bona wî ra nin.

7. 7Heke tu (ji bona xwastin û lavayan) dengê xwe bilind bikî (ya jî dizîka da bêjî, li bal Yezdan yek e). Loma ewa bi hemî dizî û veşartîyan dizane.
8. 8Yezdanê (babetê perestîyê ew e) ji pêştirê wî tu ilahek tune ne, hey ji bona wî ra navê rind hene.
9. 9Qe (ji bûyera) Mûsa, ji bona te ra zanîn hatîye?
10. 10Di gavekî da (Mûsa) agirek dîtibû. Îdî ji bona malîyên xwe ra (aha) gotibû: "Hûn li vira binivin, bi rastî agirek li ber çavê min ket (ezê herim). Guman dikim, ku ez ji wî agirî ji bona we ra kozekî bînim, ya jî ez li ser wî agirî rastê beledekî werim."
11. 11Îdî gava (Mûsa) hatîye bal wî (agirî) deng (li Mûsa hate kirinê, aha got): "Mûsa!"
12. 12"Bi rastî ez Xudayê te me, îdî tu her du pêlava derxe, loma bi rastî a, di naha da tu li newala piroz ya (bi nav) Tuwa dayî.
13. 13Û min tu (ji bona pêxemberîyê) hilbijartîye, îdî ewa tişta li bal te da tê niqandinê tu guhdarya wî bike.
14. 14Bi rastî ez, erê ez! Yezdan im, ji pêştirê min, tu ilahek tune ne, îdî tu ji min ra perestî bike, ji bona ku tu min bîra xwe bînî, tu nimêj bike."
15. 15"Bi rastî wê roya rabûna hemîyê were, ji bo ku hemî candar, bi kirinê xwe bêne xelat û celatkirinê. em (danê hatîna wê) vedişêrin."
16. 16"Îdî bira ewê, ku bi hatina wê bawer nake, te (ji bawerya hatina wê royê) nede paradanê, ewa hey bûye peyrewê hewasa canê xwe. Îdî (heke tu peyrewîya wî bikî) tu ê jî teşqele bibi."
17. 17(Yezdan ji Mûsa pirsîye, jê ra gotîye): "Mûsa! Ewê di destê te yê rastê da çî ye?"
18. 18(Mûsa bersiv daye aha) gotiye: "Ewa gopalê min e; Ez pala xwe didime li ser wî, ez pelê daran ji bona pezê xwe ra bi wî dadiweşînîm û hêj ji bona min ra di wî gopalî da hinek nîyazên mayî jî hene."
19. 19(Yezdan ji bona Mûsa ra) got: "Mûsa! Ewî (gopalê ji destê xwe) bavêje."
20. 20Dema Mûsa (ewa gopala ji destê xwe) avêt, dêna xweyê (ewa kopala) wekî tîremarekî direve (tu dibê qey zîhayek e).
21. 21(Yezdan ji Mûsa ra aha) got: "Ewî bigire, tu ji wî netirse, dîsa emê li bal diliqê wî yê berê da bizirînin.”

22.22"Tu destê xwe bixe binçenqa xwe: destê te yê bê nexweşî sipî derkebe. Eva jî berateke mayî ye.”

23.23“Ji bo ku em bi te, ji wan beratên me yên mezinên (derhoze) bidine dîtinê (me evan beratan bi te dane xûyandinê)."

24.24"Tu here bal Fir’ewn, loma bi rastî Fir’ewn ji ava rû derketîye."

25.25(Mûsa ji Yezdan lava kirîye aha) gotîye: "(Bêhna min teng e) tu bêhna min fire bike (ji bo singê min axiftinan hilde)."

26.26"Tu ji bona min ra bûyera min hêsanî bike."

27.27"Tu girêya zimanê min veke."

28.28"Ji bo ku ewan têgîhandina min bikin (ka ez çi dibêjim)."

29.29"Tu ji malîna min, ji bona min ra şûnmaî û arîkaran çê bike."

30.30"Bira ewa jî Harûnê bira yê min be."

31.31"Tu piştevanîya min bi hêz bike."

32.32"Tu ewî di bûyera min da, bixe hevparê min."

33.33"Ji bo ku em pir (ji te ra perestî bikin, em te) ji kêmayan paqij bikin."

34.34"Em pir te bîra xwe bînin."

35.35"Bi rastî tu bi xweber jî me dibînî."

36.36(Yezdan bersiva Mûsa daye, aha) gotîye: "Mûsa! Xwastinê te çi hene! (hemî) ji te ra hatine dayînê."

37.37"Bi sond! Me carekê mayî jî ji te ra qencî kiribû."

38.38" (Gava tu ji dîya xwe bûyî) me li bal dîya te da eva (kirina hanê) niqandibû."

39.39"Ku dîya te, te bixe sursûm, paşê te bavêje ava ro ya milmilok. Ji bo ku ewa ava, ewî sursûmî bavêje kêlekê xwe, wê yekê, ku neyar e ji bona min û neyar e ji bona wê (zara te ra jî) ewê (zara te) ji xwe ra bigire. (Mûsa!) Me hezkirinekî ji xwe, berdabû ser te, ji bo ku (ewa neyara) di binê dîdevanîya min da te şayî bike."

40.40"(Îdî ewî te hildaye bal xwe, me şîrê biyanan li ser te ne durist kiribû, te şîr venedixwar)". Di wê gavê da xûşka te çû bal wan; ji wan ra (aha) got: "Hûn divên, ku ez yeke bikarbe ji wî (kurîkî ra şîr bide) ewî xweyî bike, bidime nişanê we?" Ewan (bersîva xûşka te dan û gotin: "Ere" (xûşka te hat, dîya te ji wan ra bir.) Îdî me tu li bal dîya te da zivirandî. Ji bo, ku çavê wê ji hêstiran zaha bibe û bi murûzî çavnêr nebe. Û (Mûsa) te (ji wan mêrek)

kuşt, îdî me jî te fereste kirî. Ji ber ku me te ji wan kovanan kiriyî, me tu bi pir aşîtan ceribandî. Tu bi çend salan di nava komalên (bajarê) Medyenê da hewyaî, paşê ewan gavên, ku me ji bona te ra dan, dabûn (dema dawya wan hat) Mûsa! Îdî tu li bal me da hatî.”

41.41"Û min tu (bi pêxemberî) ji bona xwe ra hêlbijartî.”

42.42"Tu û birayê xwe bi beratên min va beheren û hûn herduk jî, sistayê di bîranîna min da nekin."

43.43"Hûn herduk herne bal Fir’ewn. Bi rastî ewa deliqîye ji ava rû derketîye."

44.44"(Gava hûn çûne bal Fir’ewn) jê ra gotina nerm bêjin, dibe ku ewa şîretan hilde, ya jî (ji hatina şapatan) bitirse."

45.45( Mûsa û Harûn, bersiv dane, aha) gotine: “Xudayê me! Em ditirsin, ku (Fir’ewn) êrişê bîne ser me (me bide cefadanê) ya jî îdî pirtir ji ava rû derkebe.”

46.46(Yezdan bersiva wan herdukan aha daye, ji wan ra) gotîye: “Hûn netirsin, ku loma ez bi we ra me (gotin û kirinê wan) dibêhêm û dibînim."

47.47Îdî hûn herduk herne (bal Fir’ewn, nevinin herin) ji wî ra (aha) bêjin: "Em herhuk jî pêxemberên Xwedayê te ne (Fir’ewn!) tu zarên (cihûyan) bi me ra (me) bişîne (welatê me) tu îdî li wan şapata neke. Bi sond! Me ji Xudayê te beratên derhoze (m’ucize) anîne. Xweşî û jînî ji bona peyrewê beleda ne."

48.48"Bi sond! Li bal me da halîye niqandinê; ewan kesên ku bi doza (pêxemberan bawer nakin) pişta xwe dane wan û ewan dane derewdêrandinê hene! Şapata (Yezdan) ji bona wan ra ne."

49.49(Fir’ewn ji wan pirsîye; aha) gotîye: "Mûsa! Xudayê we kî ye?"

50.50(Mûsa bersiva Fir’ewn daye) gotîye: "Ewê afirandina hemû tiştan daye (reng û rûçikê wan çê kirîye) paşê jî (di armancê afirandinê da) anîne rêya rast, heye! Ewa Xudayê me ye."

51.51(Fir’ewn ji wan pirsîye aha) gotîye: "Em (ji van doza we ra "Erê", bêjin lê) ka temtêla wan (komalên) ku di demê berê da borine çane?"

52.52(Mûsa bersiva wan aha daye) gotîye: "Zanîna bi wan, di pirtûkekî da li bal Xudayê min e. Bi rastî Xudayê min ewan wunda nake û ji bîrva jî nake."

53.53Ewê, ku ji bona we ra zemîn xistîye hêlan heye! Ewa Xudayê min e. Ewî ji bona we ra di zemîn da rêyên celeb vekirine. Û ewî ji jor da avek hinartîye.

Îdî me bi wî avî, ji hemî çêreyên celeb bi zotî afirandîye. (Di vira da tê zanînê, ku çêre jî bi zotî hatine afirandinê).

54.54Hûn ji wan hêşînayan bixun û tarişên xwe bi wan bidine çêrandinê. Bi rastî ji bona wanê, ku fermana parisaya ji sikatîyan dikin, beratên hişhildanê hene.

55.55Me hûn ji wî (zemînî) afirandine û emê dîsa we li bal wî (zemînî da bimirî) bizvirînin û emê careke dinê dîsa we ji wî (zemînî) derxin.

56.56Bi sond! Me bi Fir’ewn hemî beratên xwe yê (derhoze) dane dîtinê. Îdî ewî ewan beratan dane derewdêrandinê, ji bawerîya bi wan para da çû (bi wan bawer nekir).

57.57(Fir’ewn ji Mûsa ra aha) gotîye: "Mûsa! Qey tu hatî bal me, ji bo ku tu bi wan ançê xwe, me ji welatê me derxî?

58.58"Îdî emê jî wekî wan ançê, ku tu dikî, ançan ji te ra bînin. Îdî (Mûsa!) tu di nîveka me û xwe da, danê rademvaî dayne: Bira cîyekî wusa be, ne em ne jî tu para nekebin (ji me her du destan ra wekî hev be)."

59.59(Mûsa ji wan ra aha) got: "Danê hatina me li bal hev bira roya xemla (ji bona cejnê be); ji bo ku hemî meriv di gava taştê da bicivin."

60.60Îdî Fir’ewn para da zivirî (çû). Paşê endezezanê xwe civandin, hatine (radewa xwe).

61.61(Piştî, ku Mûsa jî hate wura, endezezanê Fir’evn dîtin, ji wan ra aha) gotîye: "Xwelî li we be! Li ser navê Yezdan bi vir derewan nekin, we reha we bi şapatan be birînê. Bi sond! Ewê vira dike, bi xweber belangaz bûye."

62.62Îdî ewan ançkarên (Fir’ewn) di nava xwe da li ser bûyera xwe tekoşîn kirine û bi dizî ji hev ra pistepist kirine.

63.63(Bi eşkere ji hev ra aha) gotine: "Evan herduk ançkaran, hey divên, ku bi ançê xwe we ji zemînê we derxin, ewan divên ku ola we ya nemûşî beherin."

64.64"Îdî hûn hemî endezeyên xwe bicivînin, paşê deste dest, bi rêzî werin. Bi sond! Kî îro bi ser va were, ewa fereste bûye."

65.65(Ançkaran ji Mûsa ra aha) gotine: "Mûsa! Tuyê bavejî, ya jî emê di cara yekem da bibine avêtkar."

66.66(Mûsa ji wan ra) gotîye: "Na, hûn bavêjin. Îdî (gava ewan gopal û kapê xwe avêtin) kap û gopalê wan, ji ançê wan (te digo qey) li bal hev da dibezyan.
67.67Îdî Mûsa (gava ewan) bi gewdetî (dîtin) di hundurê xwe da tirsîya.
68.68Me (ji bona Mûsa ra) got: "(Mûsa!) tu netirse, loma bi rastî servahatin ji te ra ne."
69.69"(Mûsa!) tişta di destê te yê rastê da heye, ewî bavêje. (Ewê destê te da) wê wan tiştên (ku ewan ançkaran) bi pêşetî çê kirine dabi'ulîne. Loma tişta ewan bi pêşetî çê kirine, ewan endezên ançkaran in. Şixwa ançkar ji kur hatibin, serfiraz nabin."
70.70Îdî (gava Mûsa gopalê xwe avêtîye, gopalê Mûsa ewan pêşeyên ançkaran daqulandîye) ançkaran xweberdane çûne secdê (aha) gotine: "Me bi Xudayê Harûn û Mûsa bawer kirîye."
71.71(Fir'ewn ji wan ra aha) gotîye: "Hêj berya min ji we ra destûr ne daye, we bi wî bawer kirîye? (Bira wusa be) bi rastî (Mûsa) mezinê we ye. Ewê ku hûn hînê ançê kirine (şixwa ewa Mûsa bi xweber e). Îdî (hûnê bibînin) ku ezê dest û pa yê we bi çîloçepî jê bikim, paşê ezê we bi serê çiqilê darê xurman da darda bikim. Hûnê wê gavê bizanin (ka ji min û ji Xudayê Mûsa) kîjan ji me zor şapat e, şapata wî her heye."
72.72Ewan (bersiva Fir'ewn dane aha) gotine: "Tu çi dikarî bikî (xwe nede para) bi serê me bike, loma em nikarin hilbijartina te, li ser van beratên vekirî ne (berçavî) kû ji me ra hatine û li ser wî Xudayê em afirandine, bikin. Tu çi jî bikî, ewa kirina te, di jîna vê cîhanê da ne."
73.73"Bi rastî me bi Xudayê xwe bawer kirîye, ji bo ku Xudayê me, xeletîyên me û ewan gonehên ji ançkirina, ku te bi me bi zor daye kirinê çêbûye) bibaxşîne. Bi rastî Yezdan (ji te) çêtirê û her maîtir e."
74.74Loma kî bi gonehan va here bal Xudayê xwe, îdî ji bona wî ra doj heye. Ewa di dojê da, ne dimire û ne jî dijî.
75.75Lê kî bi bawerî here bal Xudayê xwe, bi rastî karê aştî jî kiribe, îdî ji bona wan ra payeyên bilind hene.
76.76(Ewan payan) bihişta rez û beran e, di binê (darê) wê bihiştê da çem dikişin, ewanê di wura da her bimînin. Xelata wan (kesên, ku) xwe ji gonehan paqij dikin ewa ye.

77.77Bi sond! Me li bal Mûsa da (aha) niqandîye: "Tu zarên cihuyan (ji misrê) bi şev da derxe rê." (Gava Mûsa ewan di şevê da derxistin, hatine derê avê, nikaryan ji avê derbas bibûnan, bêzar mane) îdî me (ji bona Mûsa ra aha got: "Mûsa!) tu (gopalê xwe li avê) bixe, tu ji bona (peyrewê xwe ra) rêyeke zaha ji deryayê bigire, ji bo ku ewan (ji gîhandina Fir'ewn û hevalê wî) netirsin û (ji fetisandina di avê da jî kovanan) bi tirs nekişînin."

78.78Îdî Fir'ewn bi tevê leşkerê xwe va ketine pey wan. (Gava ewan ketine nava avê, te bidîta avê ewan) ça niximandin! Îdî ewan di ava milmilî da, fetisîn hatine niximandinê.

79.79(Bi vê kirina hanê) Fir'ewn, komalê xwe wud da kir, ne anî rêya rast.

80.80(Gava zarên cihuyan fereste bûn, me ji wan ra aha gotibû:) "Gelî zarên cihûyan! Bi sond! Me hûn ji neyarê we felat kirine. (Ji bona hinartina Tewratê me ji bona we ra) kêleka rastê çiya yê Tûrê Sîna (bi êwirgahi) peyman dabû, me (ji bona, ku hûn birçî nebin, ji bona we ra) di jor da, gezo û goştê qarutkan hinartîye."

81.81"Hûn ji paqijê rozîyên me dane we, bixun, hûn ji bona van xwarinan ne deliqin (ji ava rû dernetebin) ji bo ku xeşma min bi ser we da nekebe. Bi sond! Xeşma min bi kê da hatibe, îdî ewan krtîye agir."

82.82"Bi rastî ez bi xweber, ji bona wî kesê ji kirinê xwe yê (sik) poşman bibe û bi hebûna girêdên me (şert) bawer kiribe, paşê jî hatibe rêya rast, baxişkar im.

83.83(Piştî ewan cihûyan li çola sina ê êwirîn, Mûsa birayê xwe yê Harûn di nava wan da hîşt, ji bona peymana Xuda daye, çûne çiyayê Tûr; Yezdan ji Mûsa ra aha gotiye): "Mûsa! Gelo çi tiştê, ku tu bi lez ji komalê te (raqetandî, hatî vira?)

84.84(Mûsa aha bersiv daye) gotîye: "Heya ewan di şopa min da nin, min lez kirîye, ez hatime bal te, ji bo ku tu Xuda! bi min qayîl bibî."

85.85(Xuda bersiva Mûsa daye) gotîye: "Bi sond! Ji piştî te, me komalê te ceribandîye. Samirî ewan ji rêya rast derxistin, rêya wan wunda kirîye."

86.86Îdî Mûsa para da li bal komalê xwe da bi hêrs û kovan, zivirî (ji komalê xwe ra aha) gotîye: "Gelê min! Qey Xudayê we ji bona we ra peymanekê rind ne dabû! Qey danê peymanê pir direj bibû, ku we aha kir? Ya jî we bi

van kirinan diva, ku ji Xudayê we xeşmek bi we da were, îdî hûn rabûn, peymana we dabû mîn, jê poşman bûn?

87.87(Ewan bersiva Mûsa dane, aha) gotine: "Bi rastî em ji ber xwe da, ji wê peymana me daye te, poşman ne bûne, lê jî xişrê komalê Fir’ewn, hinek bar li me hatibû kirinê, me hildabû. îdî me ewan (xişran) avêtine (agir, me ewan bahatin) bi vî awayî "Samirî jî (xişre xwe) avête (agir bahat.)

88.88Îdî Samirî ji bona wan ra (tokela) golikeke, ku diore derxist, paşê ewan (ji hev ra aha) gotine: "Ilahê we û ilahê Mûsa eva ye, lê ewî eva birva kirîye (çûye li çîyayê "Tûrî Sîna" lê digere)."

89.89"Ma qey ewan nabînin, ku ewa golika li bal wan da tu (bersivekî) nazivirîne û ji bona wan ra qe tu kar û zîyanê jî nake?"

90.90Bi sond! Hêj berê da jî Harûn ji wan ra gotibû: "Gelê min! Bi rastî hûn bi wê golika hatine ceribandinê (hûıı ji rê derketine). Bi rastî Xudayê we ewê dilovîn e; îdî (hûn werin) bibine peyrewê min û bi gotina min bikin."

91.91Ewan (bersiva Harûn dane aha) gotine: "Bi sond! Heya Mûsa (ji çîyayê Tûr) li bal me da nezivire, neyê vira, emê hey ji bona (perestîya wê golikê) bê nivandin dom bikin."

92.92(Ji piştî, ku Mûsa ji çîyayê "Tûr" li bal wan da zivirî, bi hêrs, ji bona Harûn aha) gotîye: "Harûn! (Ka bêje) gava te dît, ku ewan (evan tiştên hanê dikin, ji bo çi) te ewan ji vê rêderketina haê nedane para da?"

93.93"Ka ji bo çi tu nebûyî peyrewê min (wekî min hêrsa xwe bianîya, ewan ji kirinê wan bidana para?) Qey te bê gotina min kirîye?"

94.94(Harûn ji bona hêrs danîna Mûsa aha) gotîye: "Kûrê dayîka min bi rû û serê min negire, loma bi rastî ez (ji te tirsîyam) dibe tu gohdarya min nekî, ku tu (ji bona min ra) bêjî: Te di nava zarên cihûyan da du tîretî kirîye (ji ber vî ez têkilî wan nebûm)."

95.95(Paşê Mûsa zivirî ser Samirî jê ra aha) gotîye: "Samirî! (ka bêje;) te ji bona çi evan tiştan kirîne?”

96.96(Samirî bersiva Mûsa aha daye) gotîye: "Tişta komal ne didît min ewa didît; (gava Cebraîl ji te ra niqandin dianîya, min ewa didît) îdî min ji şopa saî qemçek (xwelî) hildaye avête nava xişrê (hatibû bihatin, eva tokela hanê jê deket.) Şixwa canê min jî wusa şîrîn dixwest."

97.97(Mûsa ji bona Samirî ra aha) got: "Îdî tu (ji vira) here, di jîna te ya cîhanê da, ji bona te ra eva heye;" Nêzîkê min nebin (loma bi min ra derdê bê derman heye)". Ji bona te ra danê (şapatê) heye. Qe tu ji wê şapatê para nakebî, tu li encama wî ilahê xwe î, ku nedihewyaî ji wî ra te perestî dikir mêze bike. Bi rastî emê ewî bişimitînin, paşê emê ewî di ava milmilî da bi hûritî bidine bayê."

98.98"Bi rastî ewê ku ji pêştirê wî tu ilahê bebetê perestîyê tune ye, heye! Ewa Yezdanê we ye. Ewî hemî tişt hildane zanîna xwe."

99.99Bi vî awayî em ji bona te ra ji serdaborîyên berê diaxivin. Bi sond! Me ji bal xwe da (pirtûkekê da bîrxistoker) daye te.

100. 100Îdî kê ji wê rû bifetilîne, bi rastî ewê di roya rabûna hemî da barekî giran hilde.

101. 101Ewan di binê wî barî da her diminin. (Ewa bara) di roya rabûna hemî da ji bona wan ra çiqa hildaneke sik e!

102. 102Di roya, ku di Sturî da tê pufkirinê, em nûsîtemkaran di wê royê da bi çav beloqî û şasî dicivînin.

103. 103Di nava hev da pistepist dikin (ji hev dipirsin; gelo çend royan em di cîhanê da mane? Bersiva hev dane, aha gotine: "Hûn di cîhanê da hey deh royan mane."

104. 104Em bi wê (mayîna wan yê cîhanî, ku ewan di nava hev da pistepist dikirin, ji hev ra) digotin, çêtir dizanin. Loma ewanê di pêşrewanê da nemûşê wan in (aha) gotine: "Hûn di cîhanê da hey royekî mane."

105. 105(Muhemmed!) Ewan ji te temtêla çîyan dipirsin: (Ka çîyayê di roya rabûna hemû da, wê ça bibin?) îdî tu ji wan ra bêje: "Xudayê min ê wan çîyan hûr bike bixe (arişt) bide bayê."

106. 106"Îdî (Xudayê min ê) şûna wan rast bike, bihêle."

107. 107"Tu (şûna wan da) qe tu kort û tepan nabînî.”

108. 108Di wê roya (civînê da) hemû kes dibine pewrewê wî gazîkarê, ku ji bona wî ra xarkirina (li bal rast û çepê da çênabe). Hemû deng ji bona (Yezdanê) dilovan ra ker dibin. Îdî tu ji pêştirê mişînîyê tu dengî ji wan nabînî.”

109. 109Di wê royê da tu mehderî kêr nayê, ji pêştirê mehderya wî kesî, ku (Yezdan)ê dilovan ji bona wi ra destûra mehderyê dabe û (Yezdan) bi gotinê wî qayîl bûbe (mehderya vî bi tenê bi kêr tê).
110. 110(Yezdan) bi kirinê wan ê borî û bi kirinê wan ê para tê, dizane. Ewan kesan bi tu zanînê, zanîna (Yezdan, ya jî zanîna ji Yezdan bi xweber) hilnedane binê zanîna xwe.
111. 111Û hemî rû ji bona (Yezdan)ê zende û şîra zebûn bûne. Bi sond! Ewanê cewr hildane, hene! Ewan (di wê royê da) belengaz bûne.
112. 112Û kîjanî jî bawer kiribe û karê aştî kiribe, îdî ewa ji cewr û ji maf ne danê, natirse.
113. 113Bi vî awayî me (ewa pirtûka) Qur'aneke 'erebî hinartîye me di wê (Qur'an)ê da (peymana) şapatan bi cure cure fetilandin (ji wan ra gotin). Loma dibû ku ewan xudaparizî bikin, ya jî ewa (Qur'an)a ji bona wan ra bibe bîrdaxistinekî.
114. 114Îdî bi rastî serokê maf, Yezdanê bilinde. (Muhemmed!) Heya ku li bal te da niqandina wê pêk ne hatibe tu leza (xûndina) Qur'anê neke, tu (aha) bêje: "Xudayê min! Tu zanîna min pir bike."
115. 115Bi sond! Me hêj di berê da li bal nişa kesan da peyman dabû (ku ewa ji berê wê darê nexu). Îdî (ewê nişa ê peymana me) bîrva kirîye, em bi xweber jî ji bona (nişa kesan ra) rastê tu cadê ne hatin.
116. 116Gava me (nişa kesan afirandibû, me) ji bona firiştan ra (aha) gotibû: "Gelî firiştan! Hûn ji bona Adem ra secde beherin." Îdî ji pêştirê nişa pelîd hemî (firiştan ji bona Adem ra) secde birin, ewî secde nebir.
117. 117Îdî me jî (ji bona nişa kesan ra aha) got: "Adem! Bi rastî eva (pelîda) ji bo te û jina te ra neyar e (haja we bira bi we hebe) ku ewa we herdukan ji bihiştê dernexe, îdî ku hûn şepirze bibin."
118. 118"Bi rastî (di bihitê da) ji bona te ra tazîbûn û birçîbûn tune ye."
119. 119"(Tu di bihiştê da) bi rastî ne tî dibî û ne jî tav li te dixe."
120. 120Îdî pelîd li bal (nişa kesan da xwarina ji berê dara da zanînê (Şeceret ul-M'erîfet) daye siwêrandinê, ji wî ra (aha) gotiye: "Adem! Tu divê ku ez beledîya te bikim, li bal dara (dazanîna) her maî û li bal seroktîya bê dawîya ne rizî?"

121. 121Îdî (ji bo ku ji mirinê felat bibin. tim cari bijîn, rabûn) ji wê darê xwarin (piçtî xwarinê) ji herdukan ra cîhê ‘eybên wan vebûn, herduk li bal (darê) bihiştê da revîyan, ji bo ku bi pelên wan daran pêş û paşîya xwe bigirin. Adem (bi vî awayî) ji gotina Xudayê xwe derket û jê mehrûm ma.

122. 122Paşê (Adem bi zarîn û girîn ji wan kirinê xwe poşman bû). Xudayê Adem, ewa (ji nava heyan) hilbijart û kirinê wî baxişandin, îdî ewa anî rêya rast.

123. 123(Xudayê wî ji wan ra aha) gotîye: “Hûn herduk hemî (ji bihiştê) berjêr bin: Hinekê ji we, wê ji bona hinekên we ra neyar bin. Îdî gava ji min li bal we da beledî hat, kî ji we bibe peyrewê beledî ya min, paşê ewa rê wunda nake û şepirze jî nabe."

124. 124"Kîjan rû ji bîranîna min bifetilîne, îdî ji bona wî ra jîneke nemir û nejî heye û emê ewê di roya rabûna hemî da kor bicivînin."

125. 125(Ewa di wê royê da aha) dibêje: "Xudayê min! Te ji bo çi ez bi korî civandime? Bi sond (hêj berê da) min didit."

126. 126(Xuda jê ra) dibêje: "Wusa ne: Gava beretên me ji te ra hat, îdî te ewan beratên me bîrva kiribûn, tu jî wusa dî îro da hatî bîrva kirinê."

127. 127Em bi vî awayî, ewê dest belavê, ku bi beratên Xudayê xwe bawer nake celat dikin. Bi rastî şapata para da jî hêj zortir û her mayîtir e.

128. 128Qey ji bona wan ra ne bûye rêzber, ku me di berya wan da çiqa komalên çaxan teşqele kirîye? Ewan bi xweber jî di nava kavilê wan da digerin (bi çavê xwe jî ewan kavilan di bînin). Bi rastî di van (beratan da) ji bona xwe parizan, beratên sodretî hene.

129. 129Heke ewa paymana (danê şapatdana wan) ji Xudayê te ne borî bûya (celata wanê, wê bi kirina wan ra) bihata. (Lê) dane (şapatdanê) hatîye navdanê.

130. 130Îdî tu li ser gotinê wan hew bike, tu di berya roj hila û roj ava da bi sipazîya Xudayê xwe, perestî bike tu di hinekî danê şevê da û kêlekê royê da jî bi paqijîya Xudayê xwe ji kemasîyan perestîya wî bike. Loma hêvî heye ku tu (bi vê kirinê) qayîl bibî.

131. 131(Muhemmed!) Tu her du çavê xwe, li bal wan zonê (Fileyên) ku me ji hinekî wan ra ji bona ceribandina wan, xemla cîhanê daye wan, bi direjî zoq neke. Bi rastî rozîyên Xudayê te, qenctir û her mayîtir e.

132. 132Tu fermana malîyên xwe bi nimêjkirinê bike. Tu bi xweber jî li ser cefayên wê berxwe bide. Em ji te rozînan naxwezin, em ji te ra rozînan didin. Şixwa encam ji bona xudaparizan e.
133. 133Ewan (aha) gotine: "Gotî ewî (ji bona pêxemberya xwe) hinek beratên (derhoze) ne anîbûya (ku me bi wî bawer bikira)?" Qey ji bona wan ra di pirtûkê berê da beratên daveker ne hatibû?
134. 134Heke me ewan hêj di berya hatina (pêxemberan li bal wan da, teşqele kiribûnan, wê ewanê bi gotinan: "Xudayê me! Qey çi dibû, ku te li bal me da pêxemberek şandibûya, îdî hêj ku em aha ser berjêr û riswa ne bibûnan em bibûna peyrewê beratên te?
135. 135(Muhemmed! Tu ji wan ra aha) bêje: "Hemî kes dîdarî dikin, îdî hûn jî dîdarî bikin (paşê em mêze bikin) ka hevrîyên rêya rast kî ne û ka kîjan di rêya rast da nin? Hûnê wê gavê bizanin.

## Chapter 21 (Sura 21)

1. 1Ji bona kesan ra (danê) hijmara (kirinê wan) nêzîk bûye, lê ewan bi xweber jî dibe gomanîyeke wusa da nin (ji hatina wê danî) rû fetilandine.
2. 2Çiqa berateke nû ji Xudayê wan ji wan ra hatîye, ewan hey bi tinazkirina wê beratê gohdarî kirine.
3. 3Dilê wan hey di laqirdîyan da ne. Ewanê cewr kirine hene! Di nava xwe da (aha) kurepistî kirine; ma qey (Muhemmed) jî merivekî wekî we nîne? Îdî hûn ça li ber çavan diçin dibine (peyrewê wî) ançkarî?
4. 4(Pêxember ji wan ra aha) gotîye: "Bi rastî Xudayê min, di ezman û zemîn da çi gotin hebin, bi wan dizane. Ewa bihîstokê pirzan e."
5. 5Na, (Muhemmed, pêxember nîne, emê çima bibine peyrewê wî? Paşê aha) gotine: "Evan tiştên dibêje jî sêwrandin û xewên rojk in, dibe ku ji ber xwe jî dibêje. Wusa ne xwuzanekî (pir zana ye). Heke aha nîne, de ka bira wekî wan pêemberên berê hatî, ji bona me ra beratên derhoze) bîne."
6. 6Çiqa (rûniştîyên) welatekî, ku me di berya wan da teşqele kiribin, ji ber ewan bawer ne kirine, loma me ewan teşqele kirine, îja evanê bawer bikin?

7. 7Me çiqa (pêxember) di berya te da şandine, ewan jî hey mêr bûne; me 1i bal wan da niqandîye. Îdî heke hûn (bi van rastîya) nizanin, hûn ji (xweyî pirtûkan, rastîya wan) bipirsin.
8. 8Me ewan (pêxemberan) ne xistine termekî wusa, ku qe xwarinan ne xun. Ewan (pêxemberan di cîhanê da jî) bê mirin nînin.
9. 9Me paşê, ewan peymana, ku me dabû wan (pêxemberan) rast derxist. Îdî me ewan û bi evînê xwe va felat kirin û ewanê dest bela jî me teşqele kirin.
10. 10Bi sond (gelî kesan!) Me li bal we da pirtûkeke wusa hinartîye, di wê (pirtûkê da) nav û nîşanê we bi abûrî heye. Îdî qe hûn hiş hilnadin?
11. 11Me çiqa ji wan welatîyên, ku cewr kiribûne bi şkênandinê teşqele kirine! Û me paşê (di şûna wan da) komalekî mayî afirandîye.
12. 12Îdî gava ewan pêjna şapata me ye zor hildane, heman silikîne, bardarên xwe zengû kirine revîyane (ji welat derketine).
13. 13Hûn (gelî cewrkaran! Belaş) nerevin û para da li bal wan berxwudarîyên xwe û xanîyên xwe da bizivirin, loma hûnê bi rastî ji wan bêne pirsînê.
14. 14Ewan (cewrkaran aha) gotine: "Xwelî li me be! Bi rastî em cewrkar bûne."
15. 15Eva peyva (hewrê "xwelî" li me be) tim digotm; heya me ewan bi durûnî (wekî çandinan durût) dengê wan temirî.
16. 16Me ezman û zemîn û tiştên di nava wan da heyî, bi tinazî ne afirandîye.
17. 17Heke me biva, ku ji xwe ra pêlêyîztek bigirta, meyê ewa tişta li bal xwe hilda (ku ewa babet bûya ji bona navê me ra). Heke me bikira, meyê aha bikira.
18. 18Na, (gotina wan nîne, lê em) mafê davêjine ser pûçîtîyê, îdî pûçî can dide (parparî dibe, namîne). Ji bona salixên wan yên, ku ji bona (Yezdan ra kêmayan dibêjin), xwelî li we be!
19. 19Di ezman û zemîn da çi hebe! Ewan ji bona Yezdan ra nin. Ewanê li bal wî hene! Ewan ji perestîya wî, quretî nekin (ku jê ra perestî nekin) û ji perestîya wî jî nawestin.
20. 20Ewan di şev û royan da paqijaya (Yezdan) bi perestî ji kêmayan dikin, qe nakerixin (sist jî nabin).
21. 21Qey ewan (filan) ji zemîn, ji bona xwe ra hinek xuda girtine; wê ewan (xudayên ewan ji piştî mirinê) biweşînin?

67. 67Û gotin: "Perwerdekarê me! bêguman me da pey serwerên xwe û mezinên xwe, vêca wan me ji rêya rast þaþ kir."
68. 68"Perwerdekarê me! tu du qat ji ezab bide wan û bi lanetek mezin li wan lanet bike."
69. 69Gelî ên bawerî anîne! hûn nebin wekî ewên ku Mûsa acis kirin, vêca Xuda wî ji tiþtê digotin bêrî kir, û ew li cem Xuda rûmetdar bû.
70. 70Gelî ên bawerî anîne! hûn xwe ji Xuda biparêzin-bitirsin û gotina rast û durust bêjin.
71. 71Wê (Xuda) karê we ji we re li hev bîne û gunehên we ji we re bibexþîne; û kî bide pey Xuda û pêxemberê wî, êdî bi rastî ew bi rizgariyek mezin rizgar bûye.
72. 72Bêguman me, emanet, li ser asîmana û zemîn û çiyayan derpêþ kir, lê wan ji hilgirtina wî xwe para da û jê bizdiyan û mirov wî hilgirt. Bêguman ew bû sitemkarekî pirr nezan.
73. 73Ji bo ku Xuda, mêrên durû û jinên durû û mêrên pûtperest û jinên pûtperest bide ezabê û poþmaniyê ji mêrên bawermend û jinên bawermend bipijirîne. Xuda hey bexþendekar e dilovan e.

## Chapter 34 (Sura 34)

1. 1Pesn û sipas ji Xudayê ku tiþtê di asîmana û tiþtê di zemîn de ê wî ne, û pesn û sipas di axretê de jî ê wî ne. Hîkmetdarê kûrzana her ew e.
2. 2Ew e tiþtê di zemîn de diçe û tiþtê jê dertê û tiþtê ji asîman dadikeve û tiþtê tê berjor dibe tev dizane. Dilovanê bexþendekar her ew e.
3. 3Ewên kafir bûne gotin; "Danê qiyametê nayê me." Tu bêje ku: "Ne, ez sond dixwim bi perwerdekarê xwe yê zanayê bi penhan, ewê (ew dan) bê we. Bi qasî serê derziyê jî ne di asîmana û ne di zemîn de ne ji vî biçûktir û ne meztir jê veþarî namîne; tev her di kitêbekî aþîkar de ne."
4. 4Ji bo ku ên bawerî anîne û karên qenc kirine xelat bike. Evên han ji wan re bexþînekî û roziyekî rind heye.
5. 5Ewên di ayetên me de dixebitin ku bêzar bikin, ewên han ji wan re ezabekî bi jan ji pîsîtiyê heye.

6. 6Û ewên zanîn ji wan re hatiye dayîn baþ dibînin ku tiþtê ji perwerdekarê te bal te ve hatiye daxistin rastî her ew e û ew bal rêya (Xudayê) serkeftiyê hêjayî pesn ve rêberî dike.
7. 7Û ewên kafir bûne (bi tinaz ji hev re) gotin: "Ma em zilamekî nîþanî we bidin ku (ji we re bêje:) "Gava hûn giþt ji hev hûr hûr bûn, bêguman hûnê bi aferandinek nû rabin."
8. 8"Qey wî ji ber xwe ve derewa nebûyî avêtiye ser Xuda yan dînîtî pêre heye?" Ne, ewên bi axretê bawerî naynin di ezab û þayîtiyek dûr de ne.
9. 9Ma qey ew ji asîman û zemîn li tiþtê ber xwe û li tiþtê paþ xwe nanêrin-nabînin? Eger em bixwazin emê wan bi zemîn ve serûbin bikin yan emê ji asîman perça bi ser wan de bixînin. Bêguman di vî de ji her bendeyê ji dil vegerkar re ayetek (nîþanek) heye.
10. 10Sond be me qencîkî ji cem xwe da Dawid, (û me got:) "Gelî çiyaya û tirûda! hûn jî pê re tesbîha bidin (denga lê vegerînin)." Û me jê re hesin nerm kir.
11. 11(Û me gotê:) "Ku tu (zirx) ên fireh çêke û tu li gorî hewcetiyê bi pîvan çêke (ne kêm û ne zêde, ne teng û ne pirr fireh) û hûn karê qenc bikin. Bêguman ez tiþtê hûn dikin baþ dibînim."
12. 12Û me ji Silêman re jî ba (situxor kir) ku sêre sibê çûna wî mehekî ye û êwarê dagerîna wî mehekî ye; û me jê re kaniya paxir herikand, û hin ji cinna jî bi destûra perwerdekarê wî li ber destê wî dixebitin. Kî ji wan ji fermana me rû bizivrîne, emê wî ji ezabê agirê hilbûyî bidin tam kirinê.
13. 13Wan, jê re tiþtê bixwesta ji koþk û mizgevta, û heykel û koþikên wekî hewzê mezin û dîzikên ku ji cîh nedhatin bilindkirin çêdikir. (Me gotê:) "Hûn gelî malbata Dawid sipaskarî bikin" Ji bendeyên min sipaskar hindik in.
14. 14Vêca çi gava me mirinê li serê hukim kir, her kurmikê axê ku ji gopalê wî dixwar wana bi ser mirina wî vekir-nîþa wan da. Vêca çi gava ew (ji ser gopalê xwe de) ket, (êdî ji mirovan ve) xuya bû ku eger cinna tiþtê penhan zanibûna wê (ew qas) di ezabê nizimker de nemana.
15. 15Sond be, ji (xelqê) Sebe´e re di þûnwarê wan de ayetek (nî þanek) hebû: ku ji rast û çep ve du baxçe hebûn. (Ji wan re hat gotin ku:) "Hûn ji roziya perwerdekarê xwe bixwin û jê re sipas bikin? Bajarekî rind û pak û perwerdekarekî bexþendekar."

16.16Vêca wan (ji rastiyê) rû li ba xist; êdî me jî lehiya zor dijwar bi ser wan de þand û me wan herdu baxçê wan (ê xweþ) bi du baxçeyê fêkiyê tal û tirþoqî û dargezê bi dirrî û tiþtekî hindik jî ji sidrê guherand.
17.17Me wan bi sedem kufra wan wuha ceza kir. Ma em ji kafiran-nankoran pêve ceza dikin?
18.18Û me di nabeyna wan û bajarên ku me tê de firehî çêkiribû de bajarên bi hev ve-ji hev dixuyan çêkir û me çûn û hat´inê di nava wan de derbas kir; (û me gote wan ku:) "Hûn bi þeva û rojan biewletî di wan de derbas bibin."
19.19Vêca gotin: "Perwerdekarê me! tu navbera rêwîtiyên me dûr bike.", û wan li xwe sitemkarî kir; êdî me jî wan kir hin buyer (ji ên pey wan re) û me wan tev ji hev hûr hûr kir. Bêguman di vî de ji her bîhnfirehê pirr sipaskar re gellek ayet (nîþan û îbret) hene.
20.20Sond be, pelîd gumana xwe derbareê wan de rast dêrand; vêca ji destekî hindik ji bawermend pêva wan da pey wî.
21.21Tu zor û hêza wî li ser wan nebû tenê ev ku da em kesê bi axretê bawerî tîne ji ê ku ew tê de dudil e bizanbin-veqetînin. Perwerdekarê te li ser her tiþtî parêzvan e.
22.22Tu bêje ku: "Hûn gazî ewên ku hûn bêyî Xuda bi derew doz dikin, bikin; ne di asîmana û ne di zemîn de bi qasî sere derziyê jî di destê wan de nîne û ji wan re di wan de tu þirîkatî jî nîne, û jê re jiwan tu piþtvan jî nîne.
23.23Tu mehdervanî li balê bikêr nayê ji pêþtirê ê ku jê re destûr dabe. Heya gava tirs ji dilên wan sivik dibe, dibêjin ku: "Ma perwerdekarê we çi got?" Gotin: "Rastiyê (gotiye). Bilindê herî mezin her ew e."
24.24Tu bêje: "Ma ji asîmana û zemîn kî rozî dide we?" Tu bêje: "Xuda; û bêguman em yan hûn li ser rêya rast in yan jî di þaþîtîkî aþîkar de ne."
25.25Tu bêje ku: "Hûn ji sûcê me kiriye nayên pirsîn û em jî ji tiþtê hûn dikin neyên pirsîn."
26.26Tu bêje ku "Wê perwerdekarê me, me bicivîne, paþê wê bi rastiyê me ji hev safî bike. Safîkerê herî zana her ew e.
27.27Tu bêje ku: "Ka hûn ew þirîkên we pê gihan dibû nîþa min bidin?" Naxêr! serkeftiyê hîkmetdar her Xuda ye.
28.28Me te ji bo hemû mirovan re her mizgînvan û hiþyarker þandiye, lê belê pirrî mirovan nizanin.

29.29Û dibêjin: "Eger hûn rastgo ne ka ev wada han kîngê ye?"

30.30Tu bêje ku: "Wada rojekî ku hûn danakî jî hê ne paþde dikevin û ne jî pêþde dikevin ji we re ye".

31.31Û ewên kafir bûne gotin ku: "Em, ne bi vê Qur´ana han û ne jî bi ê berî wê, qet bawerî naynin." Hey xwezî te bidîtana gava sitemkar li cem perwerdekarê xwe rawestiyane ku çewa hin ji wan gotinê li hina li ba dixin! Ewên bindestxistî ji ên serdestiyên qure re dibêjin ku: "Eger ne ji we bûna, emê bibûna bawermend."

32.32Ewên serdestiyên qure jî ji ên bindestxistî re dibêjin ku: "Ma piþtî gava rêberî ji we re hat ma qey me pêþiya we girt? Ne, hûn bi xwe bûn sûcdarên gunehkar."

33.33Û ewên bindestxistî ji ewên serdestiyên qure re gotin ku: "Ne, we bi þev û bi roj xax û dafa çêdikir; lewra we bi me ferman dikir ku em bi Xuda kafir bibin û em jê re hemtayan çêkin." Wan çi gava ezab dît, poþmaniyê di dilê xwe de veþartin; û me ji xelekê agirîn kire sitûyê ewên kafir bûne. (Dergevanê dojehê gotine wan:) "Ma hûn ji tiþtê we kiriye pêve têne ceza kirin?"

34.34Her bajarê me hiþyarkera þandiyê hey têrxwariyên wan ên bitir gotine ku: "Em bi tiþtê hûn pê hatine þandin kafir în-bawer nakin."

35.35Û gotin ku: "Em bi mal û bi zarû pirrtir in û em nayên ezab dayîn."

36.36Tu bêje ku: "Bêguman perwerdekarê min, ji ê bixwaze re rozî fireh radixe û teng jî dike, lê belê pirrî mirovan nizanin."

37.37Ne malên we û ne jî zarûyên we ne ku we hey bal me ve nêz dikin; tenê ê ku bawerî anîbe û karê qenc kiribe. Êdî evên han ji wan re xelatekî qatkirî di bergîdana kirinê wan de heye û ew di koþkên bilind de jî biewle ne.

38.38Ewên ku derbareê ayetên me de dixebitin ku (me) bêzar bikin, ewên han di ezab de têne amade kirin.

39.39Tu bêje ku: "Perwerdekarê min ji ê bixwaze re rozî fireh radixe û teng jî dike. Her tiþta hûn bidin êdî ew dike þûna wê. Ew çêtirînê rozîdana ye."

40.40Û roja ku wê wan teva bicivîne paþê ewê ji feriþteyan re bêje: "Ma evên han, we dihebandin?"

41.41Gotin: "Em te (ji her kêmasiyî) pak bêrî didêrin, ne ew, tu yar û yawerê me yî. Ne, wan cinna diheband; pirrî wan bi wan (cinna) bawermend in."

42.42Êdî îro, tu kar û ziyana yekî ji we bi destê yekî nîne; û emê ji ên sitemkarî kirine re bêjin ku: "Hûn ezabê agirê we wî diderewand tam kin."

43.43Gava ayetên me li ser wan têne xwendin, ew dibêjin ku: "Evê han hey zilamek e, dixwaze ku pêþiya we ji tiþtê bapîrên we dihebandin bigre"; û gotin ku: "Evê han derewek e ku ji ber xwe ve hatiye çêkirin"; û ewên kafir bûne çi gava rastî ji wan re hat gotin ku: "Eva han efsûneke aþîkar e."

44.44Tevî ku me, ne kitêbên ew ders bixweynin dabû wan û ne jî me berî te hiþyarker bal wan ve þandibû.

45.45Û ên berî wan jî derewandibûn; tevî ku ev negihîþtine deh yeka tiþtê me dabû wan. Vêca wan pêxemberên min derewand; êdî wê înkara min (li kirinên wan) çewan be (tu mêze ke!)

46.46Tu bêje ku: "Bêguman ez yek þîreteka bitenê li we dikim (ew jî eve:) ku hûn yek yek û dido dido ji bo Xuda rabin û bifikirin." Bi hevalê we (pêxember) re tu dînîtî nîne. Ew tenê ji we re beriya ezabekî zor dijwar hiþyarkerek e.

47.47Tu bêje ku: "Her destmuza min ji we xwestibe êdî bira ew ji we re be. Destmuza min tenê li ser Xuda ye. Ew danasê li ser her tiþtî ye."

48.48Tu bêje ku: "Bêguman perwerdekarê min rastiyê davêje (dilê ê bixwaze. Ew) pirr zanayê bi tiþtê penhan e."

49.49Tu bêje ku: "Rastî hat û nerastî, ne dest pê dike û ne jî vedigere."

50.50Tu bêje ku: "Eger min rê þaþ kir, êdî bêguman ez tenê ji xwe re þaþ dikim; û eger ez rêya rast bibînim jî, êdî ew bi wehya perwerdekarê min bal min ve ye. Bêguman ew baþ sehkir e pirr nêz e."

51.51Xwezî gava ew tirsiyan te bidîta!; êdî tu xelasî nîne; û ew ji ciyekî nêz hatin girtin.

52.52Û gotin: "Me pê bawerî anî." Lê ji ciyekî dûr (ji axretê) çewa dikarin dest dirêjî (baweriya li dinê) bikin?

53.53Tevî ku ew berê (li dinê) pê kafir bûn, û ew ji ciyekî dûr bi gumanê davêjin (guman dikin ku wê vegerin dinê).

54.54Û cudatî kete navbera wan û tiþtê dilê wan dibijê, çewa ku berê bi hemtayên-hemkîþên wan hate kirin. Bêguman ew, hey di gumanek dudilî de bûn.

## Chapter 35 (Sura 35)

1. 1Pesn û sipas ji Xudayê ku aferendekarê asîmana û zemîn e û ê ku feriþteyan kiriye qasidên xwedî baskên didu didu, û sisê sisê, û çar çar.Tiþtê bixwaze di aferandinê de zêde dike. Bêguman Xuda bi her tiþtî dikare.
2. 2Xuda, her dilovaniya ji mirovan re veke êdî tu kes nikare wê bigre; û tiþta bigre jî êdî tu kes nikare wê piþtî wî biþîne. Serkeftiyê hîkmetdar her ew e.
3. 3Gelî mirovan! hûn qenciyê Xuda li ser xwe di bîr bînin. Ma ji Xuda pêve aferendekarekî heye ku ji asîman û zemînrozî bide we? Ji wî pêve tu Xudanînin. Vêca ma hûn .ima (ji rastiyê) têne zivirandin?
4. 4Eger ew te diderewînin, vêca bi rastî pêxemberên berî te jî hatinderewadin. Kar tev her bal Xuda ve têne vegerandin.
5. 5Geli mirovan! bêguman wada Xuda rast e, vêca ne bira jîna dinê we bixapîne û ne jî bira (pelîdê) pirr xapînok we bixapîne.
6. 6Bêguman pêlid ji we re neyar e, vêca hûn jî wî neyar bigrin. Bêguman ew tenê gazî partiya xwe dike ji bo ku ew bibin ehlê agirê hilbûyî.
7. 7Ewên kafir bûne ji wan re ezabekî zor dijwar heye û ên bawerî anîne û karên qenc kirine ji wan re bexþîn û xelatekî mezin heye.
8. 8Vêca ma ê ku karê wî yê xerab jê re hatiye xemilandin,vêca ew wî rind dibîne. (wekî ewê ku Xuda wî daye ser rêya rast e?) Vêca bêguman Xuda kesê bixwaze jî dide ser rêya rast. Vêca bira canê te bi kul û derdê li ser wan (ku çima ew bawerî naynin) derneyê neçe. Bêguman Xuda bi tiþtê ew dikin baþ zana ye.
9. 9Xuda ye ê ku baya þand û vêca ew ewra radikin; êdî me wî ajot bal welatekî mirî ve, vêca me zêmin piþtî mirina wê pê vejand. Rabûna (ji goran û zindî bûn jî) her wuha ye.
10. 10Kî rûmet û serkeftinê dixwaze, vêca rûmet tev a Xuda ye. Peyva rind û pak her bal ve berjor dibe û karê qenc jî ew wî bilind dike. Ewên ku xaxê xerab dikim ji wanre ezabekî zordijwar heye; û xaxê wanê han jî hey pûç û bereday diçe.
11. 11Xuda we ji axê aferand, paþê ji dilopek avik paþê we kire cot (nêr û mê). A mê çi hildigre û çi datîne her bi zanîna wî ye. Her kesê temendirêj dijî û ji

temenê wî çi kêm bibe her di kitêbê de ye. Bêguman evê han li ser Xuda pirr hêsan e.

12.12Herdû derya mîna hev nînin. Eva han (av) þêrînî xweþe vexwarina wê di ber meriv de namîne û eva han jî þorî tal e; û hûn ji herdûyan jî goþtê terr û teze dertînin dixwin û hûn xiþrê ku hûn li xwe dikin jî dertînin, û tu dibînî ku keþtî avê diqelêþe dimeþe ji bo ku hûn ji qenciya wî bi dest xin û hêvî heye ku hûn sipas bikin.

13.13Ew þevê di rojê radike û rojê jî di þevê radike û roj û hîvê sitûxor kiriye ku giþt heya demekî navdayî diherikin. Ev Xudayê han perwerdekarê we ku mulk tev ê wî ye. Ewên ku hûn bêyî wî gazî dikin-dihebînin ew biqasî qaçilê navika dendikê jî di destê wan de tune ye.

14.14Eger hûn gazî wan bikin ew gazî kirina we nabihîzin û eger bibihîstina jî bersiva we nedidan. Roja qiyametê wê bi þîrkperestiya we kafir bibin-înkar bikin. Tu kes mîna (Xudayê) kûrzana te haydar nake.

15.15Gelî mirovan! hûn hewcekarê bal Xuda ve ne û bêhewceyê hêjayî pesn her Xuda ye.

16.16Eger bixwaze wê we bive û xelqekî nû bîne.

17.17Evê han li ser Xuda zor nîne.

18.18Tu gunehkarek barê gunehê yekî din hilnagire. Eger yekî bargiran gazî bal hilgirtina wî (barê xwe ve) bike, tu tiþtek jê nayê hilgirtin (kes tiþtekî alî wî nake hilnagire) her çend merivê wî yê nêz be jî. Bêguman tu tenê ewên ku bi penhanî ji perwerdekarê xwe ditirsin û limêj dikin hiþyar dikî-ditirsînî. Kî xwe pak bike, êdî bi rastî ew ji xwe re xwe pak dike. Vegera paþîn her bal Xuda ve ye.

19.19Ê kor û ê dibîne nabin yek.

20.20Tarîtî û ronahî,

21.21Sî û germahî jî.

22.22Zindî û mirî jî nabin yek. Bêguman Xuda bi kesê bixwaze dide bihîstin. Tu bi ên di goran de ne, nikarî bidî sehkirin.

23.23Tu tenê hiþyarkerî.

24.24Bêguman me te bi rastiyê mizgînvan û hiþyarker þandiye. Her kom û civat hey hiþyarkerekî tê re bihuriye.

25.25Eger ew te biderewînin, vêca bi rastî ên berî wan jî derewandibûn, ku pêxemberên wan bi nîþanên diyar û rûpelên-pirtûkên vekirî û bi kitêba rohnîker hatibûn wan.
26.26Paþê min, ewên kafir bûn girt; vêca (te nedît) ka înkara min çewa bû.
27.27Ma te nedît ku bêguman Xuda avê ji asîman daxist; vêca me pê fêkiyên wan rengên wan cihê cihê deranî. Ji çiyayan jî rêyên-xêzên sipî û sor û rêyên çîl reþ (me çêkir).
28.28Ji mirovan û rawiran û dewaran jî her wuha rengê wan cihê cihê ne. Bêguman ji bendeyê Xuda tenê ên zana bi rastî jê ditirsin. Bêguman Xuda Serkeftiyê bexþendekar e.
29.29Bêguman ewên ku kitêba Xuda dixweynin û limêj dikin û ji roziya me daye wan bi dizî û eþkere didin, ew hêviya danûsitanekî bêziyan-bêqedandin dikin.
30.30Ji bo ku destmuz-perûyên wan bêkemasî bide wan û ji qenciya xwe ji wan re pirr bike. Bêguman ew bexþendekar e sipaskar e.
31.31Ewê me ji kitêbê bal te ve wehî kir a rastî her ew e ku ê berî xwe rast didêre. Bêguman Xuda bi bendeyan kûr zanaye baþ dibîne.
32.32Paþê me, ewan bendeyên xwe yên me hilbijartibû kire vêrisê kitêbe. Vêca hin ji wan hene li xwe tadê dikin û hin ji wan navendî ne, û hin ji wan jî bi destûra Xuda bi baþiyan bi pêþ dikevin. Qenciya herî mezin eva haye.
33.33Bihiþtê xweþiyê ku wê bikevinê de wê tê de ji bazinê zêr moriyan bixemilin û kincê wan jî tê de hevrîþim e.
34.34Û gotin: "Pesn û sipas ji Xuda re be ku xemê ji me bir. Bêguman perwerdekarê me her bexþendekar e sipaskar e."
35.35"Evê ku me ji qenciya xwe xiste warê hertimî mayînê ku tê de, ne betilandin digihîje me û ne jî tê de kerixîn têkilî me dibe."
36.36Ewên ku kafir bûne ji wan re agirê dojehê heye. Ew, ne têne kuþtin ku bimrin herin û ne jî ezabê wê ji wan tê sivik kirin. Em her kafirî-nankorî wuha ceza dikin.
37.37Ew tê de hewar û gazî dikin ku: "Perwerdekarê me! tu me derîne emê karê qenc bikin, ne ewê ku me berê dikir." (Bersiv tên dayîn ku:) "Ma qey me temenek dirêj bi qasî ê tê de difikire-þîret digre, bifikire-þîret bigre neda

we? Û hiþyarker jî ji we re hatibû. Vêca hûn (ezab) tam kin, êdî tu alîkar ji sitemkaran re nîne."

38. 38Bêguman Xuda zanayê bi penhanê asîmana û zemîn e. Bêguman ew zanayê bi veþariyê di singan de ye.
39. 39Ew e ê ku we di rûyê zemîn de kiriye caniþîn. Êdî kî kafir bibe, ew kufra wî li serê ye. Kufra kafiran li cem perwerdekarê wan ji hêrs û xeþmê pêve ji wan re zêde nake û kufra kafiran ji ziyanê pêve ji wan re zêde nake.
40. 40Tu bêje ku: "De ka we dît bêjin ku þirîkên (pûtên)we yên ku hûn wan bêyî Xuda dihebînin, ka nîþanî min bidin wan ji zemîn çi aferandiye?" Yan ji wan re þirîkatî di asîmana de heye? Yan me kitêbek daye wan ku ew jê li ser delîlek xuya ne?" Ne, sitemkar hin ji wan bi hina hey wadê xapandinê didin.
41. 41Bêguman Xuda asîmana û zemîn digre ku ji binî neçin. Sond be, eger ew ji binî herin, piþtî wî tu kes nikare wan bigre. Bêguman ew hey mulayîm e bexþendekar e.
42. 42Heye ji wan hat bi Xuda sond xwarin ku: "Eger hiþyarkerek ji wan re bê, ewê bibin yekî ji kom û civatê herî rê rast." Vêca çi gava hiþyarker ji wan re hat, hey rev û dûriya wan pirr kir.
43. 43Ji ber quretiya di rûyê zemîn de û xaxê pîs (wuha kirin). Xaxê pîs jî hey bi xwediyê xwe digre-diertile. Vêca ma ew hey li benda rêça pêþiyan e? Êdî tu, ji rê û rêça Xuda re ne tu guhezîn dibînî û ne tu ji rê û rêça Xuda re tu guherîn dibînî.
44. 44Ma ew li rûyê zemîn nagerin, vêca ku binêrin ka paþiya ên berî wan ku ew ji wan bihêztir bûn jî çewa bû? Tu tiþt di asîmana û zemîn de nikare Xuda bêzar bike. Bêguman ew hey zana ye pêkar e.
45. 45Eger Xuda mirova bi sedem tiþtê bi dest xistine-kirine bigirtana, wê li ser piþta wê (li ser rûyê zemîn) tu rawirî-candarî nehiþtana; lê belê wan heya demekî nandayî paþde dihêle. Vêca gava dema (acelê) wan bê, êdî bêguman Xuda bendeyên xwe baþ dibîne.

## Chapter 36 (Sura 36)

1. 1Yasîn (Zilamo!)
2. 2Bi Qur´ana hîkmetdar kim,

3. 3Bêguman tu, her ji pêxemberan î.
4. 4Li ser rêyan rastîn î.
5. 5(Eva) daxistina (Xudayê) serkeftiyê dilovan e.
6. 6Ji bo tu komelekî ku bav û kalên wan nehatine hiþyar kirin hiþyar bikî-bitirsînî; vêca wan hay jê nîne.
7. 7Sond be, gotin, li ser pirrî wan pêwist bûye; êdî ew hew baweri tînin.
8. 8Bêguman me xeleka avêtiye (dest û) sitûyên wan û vêca heya çena wan girtiye; êdî ew ser rakirî mane.
9. 9Û me ji pêþiya wan ve bendekî çêkiriye û ji paþiya wan ve jî bendekî; vêca me wan rapêçandiye; êdî ew nabînin.
10. 10Û ji wan re jî wekî hev e; çi tu wan hiþyar bikî-bitirsînî û çi tu wan hiþyar nekî-netirsînî,ew hew bawerî tînin.
11. 11Bêguman tu, tenê ê daye pey zikrê (Qur´anê) û bi penhanî ji (Xudayê) Mihrîban tirsiyaye hiþyar dikî-ditirsînî; vêca tu mizgîna bexþandin û destmuzekî rind bidê.
12. 12Bêguman her em miriyan vedijînin û em tiþtê bi pêþ xistene tevî rêç û þopê wan dinivsînin. Me, her tiþtî jî di kitêbek (pêþwayek) diyar de jimartiye-parastiye.
13. 13Tu ji wan re ehlê wî bajarî wek mînak bide ku gava qasid hatinê.
14. 14(Di bîr bîne) dema me du (qasida) þand bal wan, vêca wan, herdû (qasida) derewand; êdî me (wan) bi ê sisiyan piþtvanî kir; vêca gotin: "Bêguman em bal we ve hatine þandin."
15. 15(Ehlê bajêr) gotin: "Hûn jî hin mirovên wekî me ne, û (Xudayê) Mihrîban tu tiþtî danexistiye, hûn hey derewa dikin."
16. 16(Qasida) got: "Perwerdekarê me baþ dizane ku bêguman em bal we ve hatine þandin."
17. 17"Û ji ragihandinek aþîkar pêve jî li ser me nîne."
18. 18"(Ehlê bajêr) gotin: "Bêguman peþka we li me ketiye. Sond be,eger hûn bes nekin, emê we kevirbaran bikin-biricimînin û wê îþkencekî bi jan ji me bigihê we."
19. 19(Qasida) got: "Peþka we bi we re ye. Ma qey ji ber hûn hatine þîret kirin (peþk li we ketiye?). Ne, ji xwe hûn komelekî bergîberdan in."

20.20Zilamekî ji devera herî dûrê bajêr bilez hate got: "Gelê min! hûn bidin pey qasidan."
21.21"Hûn bidin pey kesê ku tu destmuzî ji we naxwaze û ew her li ser rêya rast in."
22.22"Û ma çi bûye ji min ku ez (Xuday) ê min aferandiye û hûnê her bal ve bêne vegerandinê nehebînim?"
23.23"Ma qey ezê ji wî pêve hin Xudayên din bigrim ku eger (Xudayê) Mihrîban ziyana min bixwaze, mehdervaniya wan bi tu tiþtî bi kêra min nayê û ew min xelas jî nakin?"
24.24"Bêguman ez ew gav dikevim þaþîtîkî xuya."
25.25"Bêguman min bi perwerdekarê we bawerî aniye; vêca hûn min seh bikin."
26.26(Gava wî zilamî ew gotin got, gelê wî ewî pelixand, êdî jê re) hat gotin ku: "Tu têkeve bihiþtê." Wî got ku:"Hey xwezîka gelê min bizanbûna;"
27.27"Bi tiþtê ku perwerdekarê min ji min re bexiþandiye û min kiriye ji mazûrvanên herî rind."
28.28Me piþtî wî tu leþkerî ji asiman bi ser gelê wi de danexist; nedibû em daxînin jî.
29.29Ew (têkçûna wan) tenê yek qêrînek bû; vêca ew pêre pêre vemirîn (bêhis û deng man).
30.30Hey çi heyf e li bendeyan! Her pêxemberê ji wan re tê, ew hey pê tinaza dikin.
31.31Ma qey wan nedît ku me berî wan çiqas nifþa têk biriye?, ku ew qet bal wan ve jî venagerin.
32.32Wê tev hemû jî hey li cem me bêne civandin-amade kirin.
33.33Ji wan re nîþanek jî axa miriye ku me wê vejandiye û me tene jê deraniye; vêca ew jê dixwin.
34.34Û me tê de bax û bostanê ji xurma û tirî çêkiriye û me tê de ji kaniyan jî herikandiye.
35.35Ji bo ew ji fêkiyê wî û ji tiþtê destên wan çêkiriye bixwin. Vêca ma ew hêjî sipas nakin?
36.36Pak bêrî ye (Xuday)ê ku cotan tev ji tiþtê ax hêþîn dike û ji wan bi xwe û ji tiþtê ew nizanin aferandiye.

37. 37Ji wan re nîþanek jî þev e ku em royê jê digurên; vêca ew pêre pêre di tariyê de dimînin.
38. 38Roj jî di þûngeha xwe de diherike. Evê han pîvana (Xudayê) serkeftiyê zana ye.
39. 39Me hîvê jî di hin qonaxan de pîvaye; heya ku wek çuqliyê dara xurmê yê kevnare (ku wek kevan xor dibe) vedigere.
40. 40Ne roj dikare bigihîje hîvê û ne jî þev ji royê derbas dibe. Tev jî di çerxekî de diherikin.
41. 41Nîþanek jî ji wan re (ev e ku) bêguman me azbata wan di keþtiyek dagirtî de hilgirt.
42. 42Û me ji wan re jî wekî wê (keþtiyê) tiþtê ku lê siwar dibin aferandiye.
43. 43Eger em bixwazin jî emê wan bifetisînin; êdî ne tu kes li hewara wan tê û ne jî ew têne xelas kirin.
44. 44Tenê ku dilovaniyek ji me û xweþiyek heya demekê (li hewara wan bê).
45. 45Û gava ji wan re tê gotin ku: "Hûn ji tiþtê pêþiya xwe û ji tiþtê paþiya xwe bitirsin-xwe biparêzin, dibe hûn bêne dilovanî kirin (ew qet goh nadinê).
46. 46Her nîþanek ji nîþanê perwerdekarê wan ku ji wan re tê ew hey rû jê dizivrînin.
47. 47Û gava ji wan re tê gotin ku: "Hûn jî ji tiþtê Xuda rozî daye we bidin"; ewên kafir bûne ji ên bawerî anîne re dibêjin ku: "Ma emê xwarin bidin ewê ku eger Xuda bixwaze wê xwarin bideyê?; hûn hey di þaþîkî aþîkar de ne."
48. 48Û dibêjin ku: "Eger hûn bera rastgo ne ka ev wada han kîngê ye?"
49. 49Ew hey li hêviya yek qêrînekî ne ku wan bigre û ew bi hev re xirecirê bikin.
50. 50Êdî ew nedikarin þîret û tenbîhîkî li hev bikin û ne jî bal ehlê xwe ve vegerin.
51. 51Û di sûrê de hat pif dayîn; êdî ew pêre pêre ji goran (radibin) bal perwerdekarê xwe ve dilezînin.
52. 52(Ew gav) dibêjin: "Hey xulî li me be? Kî me ji gorên me rakir? Evê han wada (Xudayê) Mihrîban e û pêxemberan ji rast gotibû."
53. 53Ew tenê yek qêrînek e; êdî ew tev li cem me dicivin-amade dibin.
54. 54Vêca îro tu kes tade lê nabe û hûn tenê bi tiþtê we kiriye têne ceza kirin.
55. 55Bêguman ehlê bihiþtê îro bi xebatên xweþ dilþa ne.

56.56Ew û jinên xwe di bin siya de li ser sedra paldayî ne.
57.57Ji wan re tê de xweþî û tiþtê daxwazî bikin hene.
58.58(Tiþtê ew dixwazin) gotina xweþiyê ji perwerdekarekî dilovan e.
59.59Hûn gelî sûcdarên gunehkar îro cihê bibin.
60.60Gelî zariyê Adem! ma qey min ji we re ferman û þîret nekir ku hûn nedin pey pelîd - wî nehebînin. Lewra bi rastî ew ji we re neyarekî aþîkar e.
61.61Û hûn min bihebînin. Rêya rastîn eva haye.
62.62Sond be wî ji we gellek nifþa ji rê deraniye. Vêca qey nedibû we hiþ tê bibrana - we xwe ragirtana?
63.63Eva han e dojeha ku hûn hatine wade dayîn.
64.64Hûn îro têkevinê ji ber kufra xwe tê biþewitin.
65.65Îro emê ser devên wan mohr bikin û wê destên wan bipeyivin û wê piyên wan bi tiþtê bi dest xistine danasî bidin.
66.66Eger me bixwesta, me yê ser çavên wan hilo kor bikirna, vêca ka di rêya rast de bilezînin; êdî ma wê çewa bibînin?
67.67Û eger me bixwesta me yê wan di þûna wan de bihiþta (têk bibirna yan rûçêkên wan biguharta) êdî nedikarbûn ronahî bibînin û ne jî vegerin.
68.68Em kî temendirêj bikin em wî di aferandinê de hêdî hêdî bêhêz dikin. Ma êdî hêjî ew hiþ tê nabin - xwe ranagirin?
69.69Me þi´ra pê nedaye hîn kirin û ew nikare bêje jî. Ew tenê þîret-bîrxistin e û Qur´aneke aþîkar e.
70.70Ji bo ku ew ê zindî hiþyar bike-bitirsîne û gotin li ser kafiran pêwist bibe.
71.71Ma qey ew nabînin ku me ji tiþtê destên me çêkiriye ji wan re hin dewaran aferandiye? vêca ew xwediyên wan in.
72.72Û me wan (dewara) ji wan re sitûxor kiriye; êdî hin ji wan lê siwar bibin û hin ji wan jî dixwin.
73.73Û ji wan re di wan (dewaran) de gellek kar û vexwarin jî heye. Vêca ma hêjî ew sipas nakin?
74.74Wan bêyî Xuda hin Xudayên din ji xwe re girtin bi hêviya ku wê bêne yarî kirin.
75.75Lê ew nikarin yariya wan bikin. Ew ji wan (Xudayên derewîn) re leþkerên amade ne.

76. 76Vêca gotina wan bira te xemgîn neke. Bêguman em, tiþtê ew vediþêrin û tiþtê diyar dikin tev dizanin.
77. 77Ma mirov nabîne ku bi rastî me wî ji dilopek avik aferandiye?; vêca ew pêre pêre bûye dijberek xuya.
78. 78Wî ji me re mînak da û aferandina xwe ji bîr ve kiriye. Wî got ku: "Hestiyê riziyayî wê kî vejîne?"
79. 79Tu bêje ku: "Ê cara pêþîn wan çêkir wê ew wan vejîne. Ew bi her aferandinî baþ zana ye."
80. 80"Ewê ku ji we re ji dara hêþîn agir çêkir; vêca hûn jî pêre pêre jê vêdixin."
81. 81Ma qey ê ku asîmana û zemîn aferandiye nikare ku hinekî wekî wan biaferîne? Belê, ew pirr aferendekarekî zana ye.
82. 82Bêguman gava ew tiþtekî bixwaze tenê fermana wî ev e ku jê re dibêje: "Çêbibe"; vêca ew jî pêre çêdibe.
83. 83Vêca pak bêrî ye ê ku xwedîtiya hemû tiþtî bi destê wî ye û hûnê her bal wî ve bêne vegerandin.

## Chapter 37 (Sura 37)

1. 1Bi (feriþteyên) qor bi qor in,
2. 2Û ên hey berî (ewran) didindajon,
3. 3Û ên hey Qur´anê dixweynin.
4. 4Bêguman Xudayê we her yek e,
5. 5Perwerdekarê asîmana û zemîn û tiþtê di navbera wan de ye û perwedekarê rojhelatan e.
6. 6Bêguman me asîmanê dinê (ê herî nêz) bi ronahî û xweþikiya sitêrkan xemilandiye.
7. 7Û ji bo parastina ji her pelîdê serkêþ;
8. 8Ku ew li civata herî jirîn gohdarî nekin û ew, ji her alî ve têne avêtin.
9. 9Qewrandinekî (bi gilokê agirîn); û ji wan re îþkencekî bi janê hertimî heye.
10. 10Tenê ê ku bi lez tiþtekî bigre û bazde, vêca sitêekê ronak (wek gilokê agir) didin pey.
11. 11Vêca tu ji wan bipirse; gelo di pîþekarî de ew zortir in-tekûztir in yan ên aferandiye? Bêguman me wan ji herîkî zelqokî aferandiye.

12.12Ne, (dev ji wan berde) tu sosreta dibînî û ew jî tinaza dikin.
13.13Û gava ew têne þîret kirin-bîr xistin ew þîret nagirin-bi bîr naynin.
14.14Û gava ayetek (nîþanek) bibînin ew dest bi tinaza dikin.
15.15Û gotin ku: "Eva han hey efsûnek xuya ye."
16.16"Ma gava em bimrin û bibin ax û hestî ma qey bera emê bêne vejandin-rakirin?"
17.17"Ma qey bav û kalên me yên pêþîn jî (wê rabin?)."
18.18Tu bêje: "Belê, û hûnê sitûxor bin."
19.19Vêca bêguman ew (rabûn) tenê yek qêrînek e; vêca ewê pêre pêre rabin û binêrin.
20.20Û wê bêjin ku: "Hey xulî li me be! roja xelat û celatê eva haye."
21.21Roja veqetandinê ku we wê diderewand eva haye.
22.22Hûn ewên sitemkar tevî jinên wan û tiþtê dihebandin bicivînin.
23.23Wan bêyî Xuda (pûta û pelîd diheband); vêca hûn rêye dojehê nîþa wan bidin.
24.24Û hûn wan bisekinînin. Bêguman ewê bêne pirsyarî kirin:
25.25"Ma çima´ hûn alîkariya hevûdin nakin?"
26.26Ne, ew îro sitûxor in.
27.27Hin ji wan li hina defitilin ji hev dipirsin.
28.28Gotin: "Bêguman hûn hey ji rast ve dihatine me."
29.29(Pêþwayan) got ku: "Ne, ji xwe hûn nebûn bawermend."
30.30"Tu zora me li ser we nebû; ji xwe hûn bûn komelek serkêþ."
31.31"Vêca gotina perwerdekarê me li ser me pêwiat e. Bêguman emê her tam bikin."
32.32"Vêca me we ji rê derxist; bêguman em bi xwe jî jirêderketî bûn."
33.33Vêca bêguman ew wê rojê di ezab de hempar in.
34.34Bêguman em bi sûcdarên gunehkar her wuha dikin.
35.35Bêguman ew, gava ji wan re dihate gotin ku: "Ji Xuda pêve tu Xuda nînin" wan quretiya dikir.
36.36Û digotin ku: "Ma qey bera emê ji bo þairekî dîn dev ji Xudayên xwe berdin?"
37.37Ne, ew bi rastiyê hat û pêxemberan jî rast gotiye.
38.38Bêguman hûnê ji ezabê bi jan tam kin.

39.39Û hûn, ji tiþtê we kiriye pêve nayên celat kirin.
40.40Bendeyên Xuda yên dilpak ne tê de.
41.41Ewên han ji wan re rozîkî xuya heye.
42.42G_ellek fêkî jî û ew bi xweþî têne mazûrvanî kirin.
43.43Di bihiþtê xweþiyan de ne.
44.44Li hember hev li ser texta rûniþtî ne.
45.45Bi tasê ji meya pak tije li ser wan tê gerandin.
46.46Ji ên vedixwin re çîlsipî meyxoþ e.
47.47Ne tê de serxweþî û zikêþî heye û ne jî ew jê ji xwe diçin.
48.48Li cem wan hin jinên çav rindê çav mezin hene ku hey li wan dinêrin.
49.49Ew herwekî hêkê sipî parastî ne.
50.50Vêca hin ji wan hina difetilin ji hev dipirsin.
51.51Yekî ji wan got ku: "Bêguman hevalekî min hebû."
52.52"Digot ku: "Ma qey tu ji ewên rasdidêrin-bawerî tînin î?"
53.53"Ma qey gava em bimrin û bibin ax û hestî ma bera emê bêne celat kirinê?"
54.54Got: "Ma gelo haya we (ji wî hevalê min) heye?"
55.55Vêca bi ser (hevalê xwe) vebû; êdî wî da nava dojehê de dît.
56.56Gotê: "Ez bi Xuda kim hin mabû ku te min têk bibrana."
57.57"Eger ne ji qenciya perwerdekarê min bûna, ezê jî bi te re li wur bûma."
58.58"Vêca ma emê nemirana newsa?"
59.59"Ji mirina xwe ya pêþîn pêve û em nayên ezab dayîn jî!?"
60.60Bêguman rizgariya herî mezin her eva haye.
61.61Vêca xebatkar ji (xweþîyê) wekî vî re bira bixebitin.
62.62Ma ev ciyê xweþ çêtir e yan dara ziqûmê?
63.63Bêguman me wê (darê) ji sitemkaran re kiriye sihetî û teþqele.
64.64Bêguman ew darek e ku ji kurahiya dojehê dertê.
65.65Fêkiyê wê herwekî serê pelîdan e.
66.66Vêca bêguman wê ew jê bixwin û wê zika jê tije bikin.
67.67Paþê bi rastî ji wan re di ser de jî vexwarinek tevlîhev ji ava kel heye.
68.68Paþê bêguman vegergeha wan bal dojeha har ve ye.
69.69Bêguman wan, bav û kalên xwe yên jirêderketî jî dît.
70.70Vêca ew li ser rê û rêça wan dibezin.

71.71Sond be, berî wan pirrî pêþiyan jî rê þaþ kiribûn.
72.72Sond be me gellek (pêxemberên) hiþyarker di nava wan de þandibû.
73.73Vêca tu binêre ka paþiya ên hatin hiþyar kirin çewa bû?
74.74Bendeyên Xuda yên dilpak ne tê de.
75.75Sond be, Nûh gazî me kir; vêca ên bersiv dan çi rind bûn!
76.76Me wî û malbata wî ji wê kovana zor mezin xelas kir.
77.77Û me ên mayîn her azbata wî hiþt.
78.78Û me navê wî di nav ên ji pare de tên hiþt.
79.79Di nav hemû aleman de silav li ser Nûh be.
80.80Bêguman em, qencîkaran wuha xelat dikin.
81.81Bêguman ew, ji bendeyên me yên bawermend e.
82.82Paþê mê ên din tev fetisand.
83.83Û bêguman Îbrahîm jî ji hemkîþê wî ye.
84.84Dema bi dilekî pak hate perwerdekarê xwe.
85.85Dema ji bavê xwe û gelê xwe re got ku: "Ma hûn çi dihebînin?"
86.86"Ma hûn bêyî Xuda bi derew hin Xudayên din dixwazin?"
87.87"Vêca ma gumana we bi perwerdekarê hemû aleman çiye?" (hûn guman dikin wê çi bi we bike).
88.88Vêca bi nêrînek li sitêrka mêzand.
89.89Vêca got ku: "Bêguman ez nexweþ im."
90.90Vêca wan piþt danê çûn.
91.91Êdî ewî berê xwe bal Xudayên (pûtên) wan ve kir vêca got: "Ma hûn çima naxwin?"
92.92"Ma çi bûye ji we hûn nepeyivin?"
93.93Vêca berê xwe da wan bi destê raste li wan da.
94.94Vêca wan berê xwe danê bilez berpê hatin.
95.95Got: "Ma hûn tiþtê we (bi destê xwe) hekandiye dihebînin?"
96.96"Xuda we û tiþtê hûn çêdikin tev aferandiye."
97.97Gotin: "Hûn jê re avahiyek lêkin, vêca hûn wî bavêjin dojeha agir."
98.98Vêca wan xwest ku pê xerabî bikin, êdî me wan kir ên herî jêrîn.
99.99(Îbrahîm) got ku: "Bêguman ez diçim bal perwerdekarê xwe, wê ew rêya rast nîþa min bide."
100. 100"Perwerdekarê min! tu (zarûkî) ji qencan bi min baxþîne."

101. 101Vêca me mizgîna zarûkî sernerm dayê.

102. 102Vêca çi gava (ew zarûk) pê re gihîþte çaxa ger û xebatê, gotê: "Kurê min! bi rastî min di xewê de dît ku min te serjê dikir; vêca binêre ka tu çi dibînî?" Got: "Bavo can! tiþtê tu têyî ferman kirin bike. Xuda hiz ke tu yê min ji bîhnfirehan bibînî."

103. 103Vêca çi gava herdûyan jî serî (ji Xuda re) danîn û wî li ser kêleka rastê serê wî danî erdê.

104. 104Me gazî kirê: Îbrahîm!

105. 105Bêguman te xewnê rast dêrand. Bêguman em qencîkaran wuha perû dikin.

106. 106Bêguman sihêtiya aþîkar her eva han e.

107. 107Û me di bergîdanê de goriyeke mezin dayê.

108. 108Û me navekî xweþ jê re di nav ên paþîn de hiþt.

109. 109Silav li Îbrahîm be.

110. 110Em qencîkaran wuha xelat dikin.

111. 111Bêguman ew ji bendeyên me yên qenc e.

112. 112Û me mizgîna Îshaq ku pêxemberek ji qencan e dayê.

113. 113Û me rozîkî fireh da wî û Îshaq; ji azbata wî qencîkar û ê aþkera li xwe sitemkar jî hene.

114. 114Sond be me li Mûsa û Harûn jî qencî kir.

115. 115Û me wan û gelê wan ji renceke mezin xelas kir.

116. 116Û me yariya wan kir; vêca ên serkeftî her bûn ew.

117. 117Û me kitêbek pirr xuyaker da wan.

118. 118Û me rêya rastîn nîþanî wan da.

119. 119Û me navekî xweþ ji wan re di nav ên paþîn de hiþt.

120. 120Silav li Mûsa û Harûn be.

121. 121Bêguman em qencîkaran wuha xelat dikin.

122. 122Bêguman ew herdû jî ji bendeyên me yên bawermend in.

123. 123Û bêguman Îlyas jî ji pêxemberan e.

124. 124(Di bîr bîne) dema ji gelê xwe re got ku: "Ma hûn xwe naparêzin-natirsin?"

125. 125"Ma hûn gazî pûta dikin-dihebînin û hûn dev ji rindtirîne aferendekaran berdidin?"

126. 126"Xuda perwerdekarê we û perwerdekarê bav û kalên we yên pêþîn e."
127. 127Vêca wan wî derewand; êdî bêguman ewê bêne amade kirinê.
128. 128Bendeyên Xuda yên dilpak ne tê de.
129. 129Me navekî xweþ jê re di nav paþîniyan de hiþt.
130. 130Silav li Îlyas be.
131. 131Bêguman em qencîkaran wuha xelat dikin.
132. 132Bêguman ew ji bendeyên me yên bawermend e.
133. 133Û bêguman Lþt jî ji pêxemberan e.
134. 134(Di bîr bîne) dema me wî û malbata wî tev xelas kir.
135. 135Ji pêþirê pîrenjinekî ku di nav ên mayî de ma.
136. 136Paþî me ên din serûbin kir.
137. 137Û bêguman hûn sibeha hey di ser wan re diçûn û tên.
138. 138Û bi þev jî, ma hûn hêjî hiþ tê nabin-xwe ranagirin?
139. 139Û bêguman Yûnis jî ji pêxemberan e.
140. 140(Di bîr bîne) dema (ji gelê xwe) dûr bû-reviya çû bal keþtîkî tije ve.
141. 141Vêca peþk kirin; êdî ew bû ji ên sitûxor (peþk li wî ket ku ew ji keþtiyê bê avêtin).
142. 142Vêca masîkî mezin wî daqurtand û ewî loma li xwe dikirgunehkar bû.
143. 143Vêca eger bi rastî ew nebûya ji limêjkaran;
144. 144Ewê di zikê wî (masiyî) de heya roja rabûnê bimana.
145. 145Vêca me wî avête zemînek rût, tevî ew nexweþ bû jî.
146. 146Û me darekî ji kundira li serê hêþîn kir.
147. 147Û me wî þandibû bal sed hezar (mirov) yan hê pirrtir.
148. 148Vêca wan bawerî anî, êdî me wan heya demekî bi xweþî jiyand.
149. 149Vêca tu ji wan bipirse ma ji perwerdekarê te re keç û ji wan re jî kur hene?
150. 150Ma qey me feriþteyan mê aferandiye û ew jî hazir û danas bûn?
151. 151Hay jê bin! bêguman ew ji derewa xwe dibêjin:
152. 152"Xuda zarû çêkiriye:" Bêguman ew pirr derewkar in.
153. 153Ma wî keça di ser kura re girtiye?
154. 154Ma çi bûye ji we?, hûn çewa hukim dikin?

155. 155Ma hêjî hûn nafikirin?
156. 156Yan ji we re delîlek zexmî xuya heye?
157. 157Vêca eger hûn bera rastgo ne ka kitêba xwe bînin!
158. 158Û di navbera wî û cinna de jî nasebek çêkirine. Sond be cinn baþ dizanin ku wê ew bêne amade kirin.
159. 159Xuda ji tiþtê ew salix didin pak bêrî ye.
160. 160Ji pêþtirê bendeyên Xuda yên dilpak.
161. 161Vêca bêguman hûn û tiþtê hûn dihebînin,
162. 162Hûn qet (kesî) nikarin li serê ji rê derînin.
163. 163Ji pêþtirê kesê ku wê têkeve dojehê.
164. 164(Feriþteyan got ku:) "Ji her yekî ji me re payekî diyar heye."
165. 165"Û bêguman em hey qor bi qor in."
166. 166"Û bêguman em hey li mêjkar in."
167. 167Her çend wan hey digot ku:
168. 168"Eger bi rastî kitêbek ji pêþiyan li cem me hebûna,"
169. 169"Emê bibûna ji bendeyên Xuda yên dilpak."
170. 170Vêca ew pê kafir bûn, êdî wê paþê bizanbin.
171. 171Sond be peyva me ji bendeyên me yên pêxember re derbas bûye ku:
172. 172Bêguman ên wê bêne yarî kirin her ew in.
173. 173Û bêguman ên serkeftî her leþkjarên me ne.
174. 174Vêca tu heya demekê rû ji wan bizivrîne.
175. 175Û tu li wan binêre; vêca ewê paþê bibînin.
176. 176Vêca ma ew bi ezabê me dilezînin?
177. 177Vêca gava ew (ezab) li hêla wan daket, vêca sibeha ên hatine hiþyarkirin tirsandin wê çiqas nexweþ be!
178. 178Tu heya demekê rû ji wan bizivrîne.
179. 179Û tu bibîne vêca ewê jî paþê bibînin.
180. 180Perwerdekarê te ku perwerdekarê serkeftinêy e ji tiþtê ew salix didin pak bêrî ye.
181. 181Û silav li ser pêxemberan be.
182. 182Û pesn û sipas ji Xudayê perwerdekarê hemû cîhanan re ye.

## Chapter 38 (Sura 38)

1. 1Sad. Bi Qur´ana xwedan zikir (pend û þîret) kim (ku gotina kafiran nerast e).
2. 2Ne, ên kafir bûne di euretî û neyartiyê de ne.
3. 3Me berî wan çiqas nifþa têkbiriye, vêca wan hewar û gazî kir, lê dema revê qet nemaye.
4. 4Ew sosret man ku hiþyarkerek ji wan hate bal wan û kafiran got ku: "Evê han efsûngerek pirr derewkar e."
5. 5"Ma ew Xudayan dike yek Xudakî? Bêguman evê han tiþtekî pirr sosret e."
6. 6Û koma sereka ji wan rabûn derketin (û gotin:) "Herin û li ser Xudayên xwe hewî bînin. Bêguman evê han tiþtek e ku tê xwestin."
7. 7"Me evê han di naf komela paþîn de jî nebihîstiye. Evê han hey derewek bi hev xistîn ye."
8. 8"Ma ji navbera me zikir (Qur´an) bi ser wî de hatiye daxistin?" Ne, ew ji zikrê min (Qur´anê) di dudiliyê de ne. Ne, wan hê ezabê min tam nekiriye.
9. 9Ma qey xiznê dilovaniya perwerdekarê te yê serkeftiyê pirr bexþende li cem wan in?
10. 10Yan qey mulkê asîmana û zemîn û tiþtê di navbera wan de ê wan e? (Eger ê wan e) nexwe bira di rêyê (asîman) de hilkþin!
11. 11(Ew) li wê der (li Bedrê) ji partiyan leþkerekî þikestxwarî ne.
12. 12Berî wan komela Nûh û Ad û Fîr´ewn ê xwedî sing jî derewandin.
13. 13Û Semûd û komela Lût û ehlê Eyketê (satara-daristanê gurr) jî (derewandin). Partî evên han in.
14. 14Teva jî hey pêxemberan derewand, vêca ezabê min pêwist bû.
15. 15Evên han hey li benda yek qêrînekî ne qu jê re tu xweþî (û veger û bixwevehatin) nîne.
16. 16Wan (bi tinaz) got ku: "Perwerdekarê me! tu berî roja hîsabê zûtir defterê me (yê qu xweþî û xelatê para me tê de ne) bide me!"
17. 17Tu li ser tiþtê ew dibêjin bîhnfirehî nîþan de û bendeyê me Dawid ê xwedan hêz di bîr bîne. Bêguman ew pirr bendewar e.
18. 18Bêguman me, pê re çiyayan sitûxor kir ku êwar û sibeha (Xuda ji kêmasiya) pak bêrî didêrin.

19.19Û teyr jî (li balê) juvandî ne; giþt jê re bendewar in.
20.20Û me mulkê wî bihês kir û me hîkmet û zanîna bi xweþî ji hev veqetandinê dayê.
21.21Ma xebera wan dozdaran ji te re hat? (Tu goh bidê) dema wan hawîdorê mîhrabê (limêjgehê) girt.
22.22Dema ew ketin bal Dawid, vêca ew ji wan bizdiya. Gotinê: "Netirse, em du dozdar in ku hina ji me li hina tadê kiriye, vêca tu bi rastiyê di navbera me de hukim bike û ji rastiyê dûr nebe-ne-heqî neke û tu rêya rast nîþa me bide."
23.23"Bi rastî evê han birayê min e, not û neh bizinê wî ne û ê min jî yek bizinekî ye, vêca wî got ku: "Tu wê jî bispêre min û di gotinê de bi ser min ket."
24.24(Dawid) got ku: "Bêguman wî bi xwestina bizina te ku tu tevlî bizînê wî bikî li te tadê kiriye. Birastî pirrî ên pezê xwe tevlîhev dikin hin ji wan li hina tadê dikin, tenê ên bawerî anîne û karên qenc kirine ne tê de. Ew jî çiqas hindik in!" Dawid zanî ku me bera wî sihêtî kiriye, vêca bexþînê ji perwerdekarê xwe xwest û li piya xwe xor kir û (ji kirinê xwe) poþman bû-vegeriya.
25.25Me jî wî jê re bexþand û bêguman jê re li cem me nêzîkahî û vegera rind heye.
26.26Dawid! bêguman me te di rûyê zemîn de kiriye caniþîn, vêca tu di nabeyna mirovan de bi rastiyê hukim bike û nede pey hewesa, vêca wê te jý rþya Xuda þaþ dibin ji wan re bi sedem ku roja hîsabê (qiyametê) ji bîr kirine ezabek dijwar heye.
27.27Me asîman û zemîn û tiþtê di navbera wan de pûç û bereday ne aferandiye. Eva gumana ên kafir bûne ye. Vêca ji agir xulî li ên kafir bûne be!
28.28Ma qey emê ên bawerî anîne û karên qenc kirine wekî xerabkarên di rûyê zemîn de bigrin? Yan emê xweparêzan wekî gunehkaran bigrin?
29.29(Eva) kitêbek pîroz e ku me wê bal te ve daxistiye ji bo ku ew di ayetên wê de hûr bifikirin û xwedan hiþ þîret bigrindi bîr bînin.
30.30Û me Silêman bi Dawid bexþand.:i bendekî rind e! Bêguman ew pirr bendewar e.

31.31(Di bîr bîne) dema berî êvarê hespê rewanî beza jê re hatin pêþkêþ kirin.
32.32Vêca got ku: "Bêguman min hizkirina mal (hespa) di ser bîranîna perwerdekarê xwe re girt heya ku (roj) bi perda (tariyê) hinda bû.
33.33(Got ku:) "Hûn wan li min vegerînin";vêca (bi þûr) çûr û sitûyan dest pê kir (jê kir).
34.34Sond be, me cendekêki avêt ser textê wî, paþê ew vegeriya.
35.35(Silêman) got: "Perwerdekarê min! tu (gunehê min) ji min re bibexþîne û mulkekî bide min ku piþtî min ji tu yekî re nebe. Bêguman tu, her bexþendekar tu yî."
36.36Vêca me bayê jê re sitûxor kir ku ew bi fermana wî kuder bivê bi xweþî û sernermî diherike.
37.37Û pelîdan jî, her avaker û noqvana (me jê re ram kir).
38.38Û (pelîd) ên din jî ku di qeyd û xelekan de girêdayî ne.
39.39Evê han dayîna me ye; êdî (ê dixwazî) qencî bike (berde) yan bihêle (bernede), bêhesab (tu serbestî).
40.40Û bêguman jê re li cem me nêzîkahî û vegerek rind heye.
41.41Û tu bendeyê me Eyûb jî di bîr bîne dema gazî perwerdekarê xwe kir ku: "Bêguman ez, pelîd bi êþ û ezab têkilî min bûye."
42.42(Vêca me gotê ku:) "Tu piyê xwe li erdê de. Eva avekî sar e û a vexwarinê ye."
43.43Û me ji ber dilovaniyek ji xwe û bîrxistina-þîreta xwedan hiþa maliyê wî û bi qasî wan pê re jê re bexþand.
44.44Û(me gotê ku:) "Tu bi destê xwe qevdekî qirþik bigre, vêce tu pê lêde û sonda neþkîne." Bêguman me wî pirr bîhnfireh dît. Çi bendekî rinde! Bêguman ew pirr bendewar e
45.45Û tu bendeyên me Îbrahîm û Îshaq û Yaqûb ên xwedan hêz û zanîn jî di bîr bîne.
46.46Bêguman me wan bi xurû dibîranîna warê (axretê-bihiþtê) pak dêreya.
47.47Û bêguman ew li cem me ji hilbijartiyên qenc in.
48.48Û tu Îsmaîl û Yese´û Zulkîf jî di bîr bîne. Giþt jî ji qencan e.
49.49Evê han bîranîneke rind e; û bêguman ji xweparêzan re vegerek rind heye.
50.50Bihiþtê xweþiyê ku derî ji wan re li ser piþtê vekirîne.

51.51Ew tê de paldayî ne; ew tê de gellek fêkî û vexwarinê dixwazin.
52.52Û li cem wan keçê hevsal ku hey li wan dinêrin hene.
53.53Tiþtê hûn ji bo roja hîsabê (axretê) têne wade dayîn evê haye.
54.54Bêguman evê han hey roziya me ye ku tu qedandin jê renîne.
55.55Evê han (ji xweparêzan re ye),û bêguman ji serkêþan re jî vegerek nerid heye.
56.56Dojeh e ku dikevinê-tê diþewitin; vêca ew çi civînek nerid e!
57.57Evê han avekî kelandî û avekî pirr sar e vêca bira ew jê tam kin.
58.58Û a din ji teþnîtê wî cot bi cot in.
59.59(Zebaniya gote serekên wan:) "Eva han komekî ye ku xwe bi we re davêjin (agir. Wan got:) "Ew qet nebixêr hatin. Bêguman ewê têkevin agir."
60.60Gotin:"Ne, hûn qet nebixêr hatin. We wî (agirî) ji me re pêþ xist. Vêca þûna manê çi nerid e!"
61.61Gotin: "Perwerdekarê me! kî evê han ji me re pêþ xistiye, êdî tu di agir de ezab jê re li ser hev pirrtir bike."
62.62Û gotin ku: "Çi bûye ji me ku em hin zilamê ku me wan ji xeraba dijmart nabînin?"
63.63"Me wan bi tinaza digirt yan .av ji wan fetilîne?"
64.64Bêguman evê han bera xirecira ehlê agir e.
65.65tu bêje: "Bêguman ez tenê hiþyarker im; û ji Xudayê yekta yê her serkeftî pêve tu Xuda nînin."
66.66"Perwerdekarê asîmana û zemîn û tiþtê di navbera wan de ye, ê serkeftiyê pirr bexþendekar e."
67.67Tu bêje: "Ew (Qur´an yan rabûna piþtî mirine) bûyerek pirr mezin e."
68.68"Hûn jê rû dizivrînin."
69.69"Tu zanîna min bi civata jorîn nîne dema ew bi hev re xirecirê dikin."
70.70"Her bal min ve wehî dibe ku bêguman ez tenê hiþyarkerek xuya me."
71.71(Di bîr bîne) dema perwerdekarê te ji feriþteyan re got ku: "Bêguman ezê mirovekî ji heriyê çêkim."
72.72"Vêca gava min wî li hev rast kir û min ji canê xwe te pif kir; êdî hûn jê re serî deynin."
73.73Vêca hemû feriþteyan tev jê re serî danî."
74.74Ji pêþtirê pelîd. Wî euretî kir û bû ji kafiran.

75.75(Xuda) got: "Pelîdo! çi nehiþt ku tu ji tiþtê min bi destê xwe aferandiye re serî deynî? tu qure bûyî yan bûyî ji poz bilindan."
76.76(Pelîd) got: "Ez jê çêtir im. Te min ji agir aferandiye û te wî jî ji heriyê aferandiye."
77.77(Xuda) gotê: "Nexwe ji wê derkeve; lewra bêguman tu qewrandî yî."
78.78"Û bêguman laneta min heya roja xelat û celatê li ser te ye."
79.79Wî got ku: "Perwerdekarê min! tu heye roja ku wê bêne rakirin li benda min bimîne."
80.80(Xuda) gotê: "Êdî bêguman tu ji wanê li benda wan tê mayîn î."
81.81"Heya roja ku wextê wê diyar e."
82.82(Pelîd) got ku: "Vêca ez bi rûmet û serkeftina te kim, ezê wan teva bixapînim."
83.83"Tenê bendeyên te yên dilpak ji wan ne tê de."
84.84(Xuda) got ku: "Vêca (Ez) rast im û her rastiyê dibêjim."
85.85"Ezê dojehê ji te û ji ên ji wan didin pey te teva tije kim."
86.86Tu bêje ku: "Ez ne tu destmuzî li serê ji we dixwazim û ne jî ez bi zorê ji ber xwe ve derdixim."
87.872Ew (Qur´an) ji hemû cîhanan re hey þîret û bîrxistin e."
88.88"Û hûnê xebera wê piþtî demekê baþ bizanbin."

## Chapter 39 (Sura 39)

1. 1Daxistina kitêbê hin bi hin ji Xudayê serkeftiyê hîkmetdar e.
2. 2Bêguman me kitêbê bi rastiyê bal te ve daxistiye vêca tu Xuda bihebîne, dîn jê re pak bidêrîne.
3. 3Hay jê bin! dînê pak her ê Xuda ye. Ewên ku ji Xuda pêve hin yar û yaweran girtine (û dibêjin ku:) "Em wan dihebînin ji bo ku ew me hey bal Xuda ve nêztir bikin"; bêguman wê Xuda di navbera wan de di tiþtê ku tê de bi hev ketine de hukim bike. Bêguman Xuda ewê ku derewkarê pirr kafir e nade ser rêya rast.
4. 4Eger Xuda bixwesta ku zarû bigire wê ji tiþtêdiaferîne a hiz dike hilbijartana. Ew pak bêrî ye. Ew Xuda yektayê herî serkeftî ye.

5. 5Wî asîmana û zemîn bi rastiyê aferandiye; þevê li ser royê dipêçe û royê li ser þevê dipêçe; ûroj û hîvê sitûxor kiriye. Tev jî ji demek navdayî re diherikin. Hay jê bin! serkeftiyê pirr bexþendekar her ew e.
6. 6We ji yek canekî aferandiye, paþê jê hevala wî jî çêkir û ji we re ji dewara heþt cota daxistiye (aferandiye). We di zikê dayîkên we de di sê tarîtiyan de bi aferandinek piþtî aferandinek diaferîne. Ev Xudayê han perwerdekarê we ye. Mulk her ê wî ye. Ji wî pêve tu Xuda nînin. Nexwe hûn çewa têne zivirandin?
7. 7Eger hûn kafir bibin, êdî bêguman Xuda ji we bêhewce ye, û ew ji bendeyên xwe bi kufrê qayil nabe. Eger hûn sipas bikin ew pê ji we qayil dibe. Tu bardarê guneha barê gunehê yekî din hilnagire. Paþê vegera we her bal perwerdekarê we ve ye; vêca wê we bi tiþte we kiriye haydar bike. Bêguman ew baþ zanayê bi tiþtê di singan de ye.
8. 8Gava nebaþîkî têkilî mirov dibe ew gazî perwerdekarê xwe dike, bal ve vedigere, paþê gava qencîkî ji xwe pê dike, ew tiþtê berê bal ve gazî dikir ji bîr dike, û ji Xuda re hemtayan çêdike ji bo ku (mirova) ji rêya wî þaþ bike. Tu bêje ku: "Tu bi kufra xwe hindikî kêfxweþ be. Bêguman tu ji hevalê agirî."
9. 9Ma (evê han baþ e) yan ê ku nîvê þevê radibe serê xwe datîne û li piya limêj dike, ji (ezabê) axretê ditirse û dilovaniya perwerdekarê xwe hêvî dike? Tu bêje ku: "Ma ên dizanin û ên nizanin wekî hev in." Bêguman tenê xwedan hiþ difikirin-þîret digrin.
10. 10Tu bêje ku: "Gelî bendeyên min ên bawerî anîne! hûn xwe ji perwerdekarê xwe biparêzin-bitirsin. Ji ewên di vê dunya han de qencî dikin qencî heye; û axa Xuda fireh e. Bêguman tenê ên bîhnfireh bêjimartin destmuza wan bi tevayî tê dayîn."
11. 11Tu bêje ku: "Bêguman ez hatime ferman kirin ku Xuda bihebînim, dîn hey jê re pak bidêrim."
12. 12"Û ez hatime ferman kirin ku ez bibim pêþînê musilmanan."
13. 13Tu bêje ku: "Bêguman ez, eger bêemriya perwerdekarê xwe bikim, ji ezabê roja mezin ditirsim."
14. 14Tu bêje ku: "Ez hey Xuda dihebînim, dînê xwe jê re pak didêrim."

15.15"Vêca hûn ji wî pêve kî dixwazin bihebînin." Tu bêje ku: "Bêguman ziyankar ew in ku xwe û ehlê xwe roja qiyametê ziyan kirine. Hay jê bin! ziyana herî xuya eva haye.
16.16Ji wan re di ser wan re tebeqên ji agir û di bin wan re tebeqên (ji agir) hene. Evê han Xuda bendeyên xwe pê ditirsîne. Bendeyên min! êdî hûn xwe ji min biparêzin-bitirsin.
17.17Ewên ku xwe ji pelîd dûr girtine ku wî bihebînin û bal Xuda ve vegeriyane, mizgîn ji wan re ye.
18.18Vêca ku gotinê dibihîzin êdî didin pey a herî rindê wê. Evê han in ên ku Xuda wan daye ser rêya rast û ên xwedan hiþ jî her evên han in.
19.19Vêca ma ê peyva ezabê li serê pêwist bûye, ma ê di agir de tê xelas bikî?
20.20Lê belê, ên xwe ji perwerdekarê xwe parastine ji wan re koþkê bilind ku di ser wan re qonaxên avakirî hene ku di binê wan re jî çem diherikin. Wada Xuda ye ( ku bi wan re wad daye). Xuda ji wada xwe danagere.
21.21Ma tu nabînî ku bêguman Xuda avê ji asîman daxistiye, vêca wê di zemîn de kiriye kanî, paþê pê çandiniyê cihê reng derdixe, paþê ew hiþk dibe. Vêca tu wî zerbûyî dibînî paþê wî hûr hûr dike. Bêguman di vî de ji xwedan hiþan re þîret û bîrxistinî heye.
22.22Vêca ma ê ku Xuda singa wî ji Îslamê re vekiribe û ew li ser ronahiyek ji perwerdekarê xwe be (wekî ê bêronahî ye?) Vêca xulî li ên ku dilên wan ji bîranîna Xuda hiþk in! ewên han di þaþîkî diyar de ne.
23.23Xuda rindtirê peyva ku kitêbek (ayetên wê) dirûvêhev pêdixin, têne dubare kirin, daxistiye ku çermê ên ji perwerdekarê xwe ditirsin jê diguruze, paþê çermê wan û dilên wan bal bîranîna Xuda ve nerm dibe. Evê han rêberiya Xuda ye ku ê bixwaze rêberî rêya rast dike. Kesê Xuda wî ji rê þaþ bike, êdî tu rêber jê re nînin.
24.24Vêca ma ê ku roja qiyametê xwe bi rûyê xwe ji dijwariya ezab diparêze (wekî ê ku dikeve bihiþtê ye?) Ji sitemkaran re tê gotin ku: "Hûn tiþtê we bi dest xistiye tam bikin."
25.25Ên berî wan jî derewandin, vêca ezab ji alîkî ku haya wan jê nebû hate wan.
26.26Vêca Xuda rûreþiya di jiyana dinê de bi wan da tam kirin û ezabê axretê jî her mezintir e, eger bizanbûna (lê ew nizanin).

27. 27Sond be me di vê Qur´ana han de ji mirovan re her mînakî daye; hêvî heye ku ew bifikirin-þîret bigrin.
28. 28Qur´anek (bi zimanê) erebî ye, bê tu çewtî ye; hêvî heye ku ew xwe biparêzin-bitirsin.
29. 29Xuda, zilamek mînak da ku çend kes tê de þirîk in li serê xirecir dikin û zilamek jî ê yekî bitenê ye. Ma ev herdu ji alî mînak ve wekî hev in? Pesn û sipas ji Xuda re. Ne, pirrî wan nizanin.
30. 30Bêguman tê bimrî û bêguman ewê jî bimrin.
31. 31Paþê bêguman hûnê roja qiyametê li cem perwerdekarê xwe bi hev re xirecirê bikin.
32. 32Vêca ma ji ê derewa davê ser Xuda û rastiyê dema jê re tê diderewîne sitemkartir kî heye? Ma ji kafiran re þûnwarek di dojehê de nîne?
33. 33Ewê ku rastiyê aniye û wê rast dêraye, ên xweparêz her evê han in.
34. 34Ji wan re li cem perwerdekarê wan tiþtê bixwazin heye. Xelata qencîkaran eva haye.
35. 35Ji bo ku Xuda nerindtirê tiþtê kirine ji wan bibe-veþêre û destmuza wan bi rindtirê tiþtê kirine perû bike.
36. 36Ma qey Xuda têra bendeyê xwe nake? Ew te bi ên pêþtirê wî didin tirsandin. Xuda, kî ji rê þaþ bike êdî tu rêber jê re nînin.
37. 37Û Xuda, kî bide ser rêya rast, êdî tu kes nikare wî ji rê þaþ bike. Ma qey Xuda serkeftiyê heyfsitan nîne?
38. 38Sond be eger tu ji wan bipirsî ku kî asîmana û zemîn aferandiye? Wê bêjin: "Xuda". Tu bêje ku: "De ka binêrin, tiþtê hûn bêyî Xuda dihebînin, eger Xuda bixwaze ziyanek bigihîne min, ma ew (pût) dikarin ziyana wî rakin yan eger bixwaze dilovaniyek bigihîne min, ma ew dikarin dilovaniya wî nehêlin?" Tu bêje ku: "Xuda besî min e. Ên xwesipar her xwe dispêrin wî."
39. 39Tu bêje: "Gelê min! hûn di þûna xwe de bixebitin, bêguman ez jî xebatkar im; vêca hûnê paþê bizanbin."
40. 40"Kî ezab pêde were, ew wî rûreþ dike û ezabê hertimî jî bi ser de tê."
41. 41Bêguman me ji mirovan re kitêbê bi rastiyê li ser te daxistiye, vêca kî rêya rast bibîne êdî ew ji xwe re dibîne û kî jî rê þaþ bike êdî ew ji xwe re þaþ dike. Tu li ser wan parêzvan nînî.

42.42Xuda cana dema mirina wan distîne û a ku di xewa xwe de nemiriye jî (distîne). Vêca a ku mirinê li serê hukim kiriye digre û a din jî heya demekî navdayî berdide. Bêguman di vî de ji komelekî difikirin re gellek ayet (nîþan) hene.
43.43Ma bêyî Xuda hin mehdervana girtine? Tu bêje ku: "Ma gelo ew tu tiþt di dest wan de nebe û ew hiþ tê nebin jî (hêjî ewê wan ji xwe re mehdervan bigrin?)."
44.44Tu bêje ku: "Mehdervanî tev her a Xuda ye.Mulkê asîmana û zemîn her ê wî ye. Paþê hþnê her bal wî ve bêne vegerandin."
45.45Û gava Xuda bitenê bê bîranîn, dilê ewên bi axretê bawerî naynin bi quretî û nexweþî tê girtin; û gava ên bêyî wî têne behs kirin ew pêre pêre dilþa dibin.
46.46Tu bêje: "Xudayê me! ê ku asîmana û zemîn aferandiye, zanayê bi penhan û peyda ye! tu di navbera bendeyên xwe de di tiþtê ew tê de bi hev ketine de hukim dikî."
47.47Bêguman eger hemû tiþtê di rûyê zemîn de û bi qasî wî jî pê re ê wanê sitemkarî kirine bûna, wê wan roja qiyametê ji ber zoriya ezab ve bergîdan bidana. Ji wan re ji Xuda tiþtê qet guman nedikirin xuya bû.
48.48Xerabiyê tiþtê bi dest xistin ji wan re xuya bû û tiþtê pê tinaza dikirin bi wan de hat.
49.49Vêca gava nexweþîkî digihîje mirov, ew gazî me dike. Paþê gava em xweþîkî ji xwe didinê ew dibêje: "Bêguman ew li ser zanînek ji min re hatiye dayîn." Ne, ew (jê re) sîhetî ye, lê belê pirrî wan nizanin.
50.50Bi rastî ên berî wan jî vê gotibûn; vêca tiþtê bi dest xistibûn qet bikêra wan nehat.
51.51Vêca xerabiyê tiþtê bi dest xistin hate serê wan. Ji ewên han jî ên ku sitemkarî kirine wê xerabiyê tiþtê bi dest xistine were serê wan û ew nikarin nehêlin jî.
52.52Ma qey ew nizanin ku bêguman Xuda rozî ji kesê bixwaze re fireh dike û teng dike. Bêguman di vî de ji komelekî ku bawerî tînin re gellek ayet (nîþan) hene.

53.53Tu bêje: "Gelî bendeyên min ên ku li xwe tadê kirine- ji hed derketine! hûn ji dilovaniya Xuda bêhêvî nebin. Lewra bêguman Xuda hemû guneha dibexþîne. Lewra bêguman bexþendekarê dilovan her ew e.
54.54"Û hûn bal perwerdekarê xwe ve vegerin û berî ku ezab bê we hûn jê re serî deynin, paþê hûnê neyên yarî kirin."
55.55"Û berî ku ezab ji niþkav de bê we û haya we jê nebe hûn bidin pey rindtirê tiþtê ji perwerdekarê we bal we ve hatiye daxistin."
56.56Û (hûn bilezînin berî) ku her kes (ji we) bêje: "Hey wax li min! li ser kêmasiyê ku min derbareê Xuda de kiriye û ez jî her ji wanê ku tinaza dikirin bûm."
57.57Yan bêje: "Eger Xuda min bida ser rêya rast ezê jî bibûma ji xweparêzan."
58.58Yan jî dema ezab bibîne bêje: "Eger bi rastî firsendek din ji min re hebûna, êdî ezê jî bibûma ji qencîkaran."
59.59(Xuda wuha bersiva wî dide:) "Belê çewan, bi rastî ayetên min ji te re hatin, vêca te wan derewand û te quretî kir û tu bûyî ji kafiran."
60.60Û roja qiyametê tu ewên ku derewa davên ser Xuda dibînî ku rûyên wan reþ bûye. Ma qey ji qureyan re þûnek di dojehê de nîne?
61.61Û Xuda ewên xweparêzî kirine jî bi qenciyên wan, wan xelas dike; ne xerabî digihê wan û ne jî ew xemgîn dibin.
62.62Xuda aferandekarê her tiþtî ye û ew li ser her tiþtî parêzvan e.
63.63Miftê gencineyê asîmana û zemîn ê wî ne. Ewên ku bi ayetê Xuda kafir bûne ên ziyankar her ewên han in.
64.64Tu bêje: "Gelî nezana! ma hûn fermana min dikin ku ez ji pêþtirî Xuda bihebînim?"
65.65Sond be bal te û bal ên berî te ve hatiye wehî kirin ku eger tu þirîka çêkî wê karê te hey biþewite û tê yî bibî ji ziyankaran.
66.66Ne, êdî tu her Xuda bihebîne û bibe ji sipaskaran.
67.67Wan rûmeta Xuda çewa hêjayê wî ye negirt. Roja qiyametê zemîn tev di destê wî de ye û asîman jî bi destê wî yê rastê pêçayî ne. Ew, ji tiþtê dikin þirîk pak bêrî ye û pirr bilind e.
68.68Û di sûrê de hat pif dayîn, êdî ên di asîmana de û ên di zemîn de ne ji pêþtirê ê ku Xuda bixwaze pêve tev ji qêrînê bêhiþ ketin mirin, paþê dîsa tê de hat pif dayîn, êdî ew pêre pêre rabûn li bendê man.

69. 69Zemîn bi ronahiya perwerdekarê xwe rohnî bû û kitêb hat danîn û pêxember û danas hatin anîn û di navbera wan de bi rastiyê hate hukim kirin û ew nayên tade kirin jî.
70. 70Herkes tiþtê kiriye bêkêmasî hatiye dayîn û ew bi tiþtê dikin zanatir e.
71. 71Û ewên kafir bûne kom bi kom bal dojehê ve têne ajotin, heya gava hatinê pêre derên wê vebûn û dergevanên wê ji wan re gotin ku: "Ma qey hin pêxemberên ji we ku ayetê perwerdekarê we li ser we dixwendin û we bi pergîhatina vê roja we ya han hiþyar dikirin-ditirsandin ji we re nehatin?" Gotin: "Belê çewa (nehatin).".Lê belê peyva ezab li ser kafiran pêwist bûye."
72. 72Hat gotin ku: "Hûn têkevin deriyê dojehê hertimî tê de bin. Vêca þûna qureyan çi nerind e!"
73. 73Û ewên ku xwe ji perwerdekarê xwe parastibûn-tirsiya bûn kom bi kom bal bihiþtê ve hatin ajotin, heya gava hatinê û deriyên wê hatibûn vekirin û dergevanên wê gotin wan: "Silav li we be. Hûn dilþa ne. Êdî hertimî têkevinê."
74. 74Wan jî got ku: "Pesn û sipas ji Xudayê ku wada xwe ji me re rast deranî û me kir mîratxwirê zemîn ku em ji bihiþtê kuder bixwazin wê der qonax digrin. Vêca xelata xebatkaran çi rind e!"
75. 75Û tu feriþteyan dibînî ku hawîdorê text girtine bi pesn û sipasê perwerdekarê xwe wî pak didêrin. Di navbera wan de bi rastiyê hate hukim kirin û hat gotin ku: "Pesn û sipas ji Xuda perwerdekarê hemû aleman re ye."

## Chapter 40 (Sura 40)

1. 1Ha, Mîm.
2. 2Daxistina kitêbê ji Xudayê serkeftiyê zana ye.
3. 3Ew bexþendekarê gunehan û litekarê poþmaniyan, ezab dijwarê xwedan qencî ye; ji wî pêve tu Xuda nînin; veger her bal wî ve ye.
4. 4Ji ewên kafir bûne pêve kes di ayetê Xuda de xirecirê nake vêca bira çûn û hatina wan di welatan de te nexapîne.

5. 5Berî wan komela Nûh û partiyên piþtî wan jî derewandin. Her civatî dixwest ku pêxemberê xwe bigre (bikuje), lê min wan girt; vêca ka ezabê min çewa bû?
6. 6Her wuha peyva perwerdekarê te li ser ewên kafir bûne pêwist bû ku bêguman ew hevalê agir in.
7. 7(Feriþte) yên ku text hildigrin û ên hawîdorê wî bi pesn û sipasê perwerdekarê xwe limêj dikin-wî pak didêrin û pê bawerî tînin û ji ên bawerî anîne re bexþînê dixwazin (û dibêjin:) "Perwerdekarê me! te bi dilovanî û zanîn her tiþtî dagirtiye, vêca tu ji ewên poþman bûne-vegeriyane û dane pey rêya te re bibexþîne û tu wan ji ezabê dojehê biparêze."
8. 8"Perwerdekarê me! tu wan û ji bav û kalên wan û pîrekên wan û azbata wan yên qenc bûne têxe bihiþtê xweþiyê de. Bêguman tu, serkeftiyê hîkmetdar her tu yî."
9. 9"Û tu wan ji nebaþiyan biparêze. Tu, wê rojê, kî ji nebaþiyan biparêzî, êdî bêguman te lê dilovanî kiriye. Rizgariya herî mezin jî her eva haye."
10. 10Bêguman ewên kafir bûne tên gazî kirin ku: "Hêrsa Xuda ji hêrsa we bi xwe mezintir e. Lewra hûn bal bawerîyê ve dihatin gazî kirin, vêca hûn kafir dibûn."
11. 11Wan got ku: "Perwerdekarê me! te du cara me mirand û te du cara jî me jiyand, êdî me gunehên xwe li xwe daniye; vêca gelo bal derketinê ve rêyek heye?"
12. 12Ev (ezab)ê han ji ber vî ye ku bêguman gava Xuda bitenê dihate gazî kirin-hebandin hûn kafir dibûn, û eger jê re þirîk bihatana çêkirin we bawerî dianî. Êdî hukim her ê Xudayê herî bilindê herî mezin e.
13. 13Ew e ê ku ayetên (nîþanên) xwe nîþanî we dide û ji we re ji asîman rozî dadixe. Ji ê vedigere pêve kes nafikire-þîret nagire.
14. 14Her çend kafir nexwazin jî êdî hûn her gazî Xuda bikin-wî bihebînin, dîn jê re pak bidêrînin.
15. 15Ew bilindkirê payeyan e (û) xweyê text e; ji bendeyên xwe kî bivê giyanê (can, wehî, Qur´an, dilovaniyê) ji fermana xwe davê serê ji bo ku (wî) bi roja pergîhatinê hiþyar bike-bitirsîne.
16. 16Roja ku ew tev li rastê xuya ne; tu tiþt ji wan li ser Xuda veþarî namîne. Mulk îro ê kî ye? Ê Xudayê yektayê herî serkeftî ye.

17.17Îro her kes bi tiþtê bi dest xistiye tê celat kirinê. Îro tu neheqî-sitemkarî nîne. Bêguman Xuda, hesaba zû dibîne.
18.18Û tu wan bi roja nêzhatî hiþyar bike-bitirsîne dema dil li nik qirika bi tirs û xem dagirtîne; ji sitemkaran re ne dostekî germ heye û ne jî mehdervanekî ku li pey tê çûyîn heye.
19.19Ew, bi çavên zexel û bi tiþtê sing vediþêrin dizane.
20.20Xuda bi rastiye hukim dike, û ewên ji pêþtirê wî gazî dikin bi tu tiþtî hukim nakin. Bêguman sehkirê baþ dibîne her Xuda ye.
21.21Ma qey ew li rûyê zemîn negeriyane ku binêrin ka paþiya ewên beriya wan çewa bû? Ew ji wan bihêztir û di rûyê zemîn de bi rêç þop bêtir bûn; lê Xuda wan bi sedem gunehên wan girt û ji wan re tu parêzvan jî nebû ku wan ji Xuda biparêze.
22.22Evê han ji ber ku bêguman ew, pêxemberên wan hey ji wan re nîþanên xuya dianîn lê ew kafir dibûn, êdî Xuda jî wan girt. Lewra bêguman ew hêzdar e ezabdijwar e.
23.23Sond be me Mûsa bi ayetên xwe û bi delîlek xuya þand,
24.24Bal Fîr´ewn û Haman û Qarûn; lê wan got ku: "Efsûngerek pirr derewkar e."
25.25Vêca çi gava ew ji cem me bi rastiyê hate wan, gotin ku: "Hûn zarûyê ên pê re bawerî anîne bikujin û pîrekên wan zindî bihêlin." Lê xax û dafê kafiran hey di þaþîtî û tewþîtiyê de ye.
26.26Fîr´ewn got ku: "Hûn min berdim ez Mûsa bikujim û bira ew gazî perwerdekarê xwe bike. Bêguman ez ditirsim ku ew dînê we biguherîne yan ew di rûyê zemîn de xerabkarî derxe."
27.27Mûsa got ku: "Ez xwe ji (xerabiya) her qureyê ku bi roja hîsabê (qiyametê) bawerî nayne davêjim perwerdekarê xwe û perwerdekarê we."
28.28Zilamek bawermend ji malbata Fîr´ewn ku baweriya xwe vediþart got ku: "Ma hûnê zilamekî ku dibêje perwerdekarê min Xuda ye û tevî ku delîlên xuya ji pererdekarê we ji we re aniye bikujin? Eger ew derewkar be ji xwe derewa wî jê re ye û eger rastgo be, wê hinek tiþtê ji we re wade dide bê serê we. Bêguman Xuda kesê jihedderketiyê pirr derewkar nade ser reya rast."

29.29"Gelê min! îro mulk ê we ye, hûn di rûyê zemîn de serdest in, lê eger ezabê Xuda ji me re were êdî wê kî yariya me bike?" Fîr´ewn got ku: "Ez her tiþtê rast dibînim nîþa we didim û ez hey berê we didim rêya rast."
30.30Ewê bawêrî anîbû got ku: "Gelê min! bêguman ez li ser we ji (rojekî) wekî roja partiyan ditirsim."
31.31"Wekî þopa Nûh û Ad û Semûd û ên pey wan. Xuda ji bendeyan re sitemkarî naxwaze."
32.32"Gelê min! bêguman ez li ser we ji (ezabê) roja tevgaziyê ditirsim."
33.33"Roja hûnê piþt bidinê û birevin; tu perêzvan nikare we ji Xuda biparêze. Xuda kî ji rê þaþ bike êdî tu rêber jê re nînin."
34.34"Sond be, berê Yûsif jî bi delîlên xuya hate we, vêca hûn ji tiþtê ew pê hatibû hey di dudiliyê de bûn, heya gava ew mir, we got ku: "Xuda, piþtî wî qet tu pêxemberî naþîne." Xuda, kesê jihedderketiyê dudilî, wuha ji rê þaþ dike."
35.35"Ewên ku bêyî delîlekî xurt ku ji wan re hatiye di ayetê Xuda de xirecirê dikin li cem Xuda û li cem ên bawerî anîne, ew (xirecira wan) hêrsek mezin radika. Xuda, li ser her dilê qureyê zordar, wuha mohr dike."
36.36Fîr´ewn jî got ku: "Hamano! tu ji min re koþkekî lêke, dibe ez bigihîjim deriyan."
37.37"Deriyê asîmana, vêca ez bi ser Xudayê Mûsa vebim, lê bi rastî ez wî derewkar guman dikim." Ji Fîr´ewn re karê wî yê xerab wuha hat xemilandin û ew ji rê hat liba xistin. Xax û dafê Fîr´ewn hey pûç û beredayî ne.
38.38Ewê bawerî anîbû got ku: "Gelê min! hûn bidin pey min, ezê we bigihînim rêya rastiyê."
39.39"Gelê min! bêguman ev jiyana dinê tenê hinek xweþî ye, û bi rastî axret her warê mayînê ye."
40.40"Kî karekî xerab bike ew hey biqasî wî tê celat kirinê û ji mêr û jina kî karê qenc bike û ew bawermend be êdî ewên han dikevin bihiþtê, ew tê de bêjimar têne rozî kirin."
41.41"Gelê min! ma çi bûye ji min ku ez we gazî bal rizgarîyê ve dikim û hûn min gazî bal agir ve dikin?"

42.42"Hûn gazî min dikin ku ez bi Xuda kafir bibim û jê re tiþtê ku zanîna min pê nîne têxîm þirîk; tevî ku ez we gazî bal (Xudayê) serkeftiyê pirr bexþendekar ve dikim!"
43.43"Ziyan nake, bêguman tiþtê hûn min bal ve gazî dikin jê re ne di dinê de û ne jî di axretê de dozekî heye, û bêguman vegera me her bal Xuda ve ye û bi rastî ên jihedderketî her ew hevalê agir in."
44.44"Vêca hûnê di nêz de tiþtê ez ji we re dibêjim di bîr bînin, û ez karê xwe her dispêrim Xuda. Lewra bêguman Xuda bendeyan baþ dibîne."
45.45Vêca Xuda wî ji xerabiyê tiþtê lê xax û daf çêkiribûn parast û xerabê ezaba malbata Fîr´ewn girte nav xwe.
46.46Ew sibe û êvara li ser agir têne pêþkêþ kirin û roja danê qiyametê radibe hûn malbata Fîr´ewn têxin zortirê ezaba.
47.47Û (di bîr bîne) dema ew di agir de bi hev re xirecirê dikin, vêca ên bindest ji ewên serdestên qure re dibêjin ku: Bêguman em peyrewê we bûn, vêca hûn dikarin parîkî agir ji me dûr bikin-me jê bêhewce kin?"
48.48Ewên serdestên qure gotin ku: "Bêguman em tev tê de ne. Bêguman Xuda di navbera bendeyan de hukim kiriye."
49.49Ewên di agir de ji dergavanê dojehê re gotin ku: "Hûn ji perwerdekarê xwe bixwazin bira rojek ezab ji me sivik bike."
50.50(Dergavanan) got ku: Ma qey pêxemberên we ji we re delîlên xuya neanîn." Gotin: "Belê (anîn)." (Dergavanan) got ku: "Hûn gazî kin, lê gaziya kafiran hey pûç û beredaye."
51.51Bêguman em, hem di jiyana dinê de û hem jî di roja ku danas radibin de yariya pêxemberên xwe û ên bawerî anîne dikin.
52.52Roja ku poþmaniya sitemkaran bi kêrî wan nayê û ji wan re lanet heye û ji wan re warê nexweþ heye.
53.53Sond be me rêberiyê da Mûsa û me zariyê Îsraîl kire wêrisê kitêbê.
54.54Ku ew ji xwedan hiþan re rêber û bîranîn e-þîret e.
55.55Vêca tu bîhna xwe fireh ke, lewra bêguman wada Xuda rast e û tu ji gunehê xwe re bexþînê bixwaze û êvar û sibeha bi pesn û sipasê perwerdekarê xwe wî pak bêrî bidêre.
56.56Bêguman ewên ku bêyî delîlek xurt ku ji wan re hatine di ayetê Xuda de xirecirê dikin, ew hey di singê wan de quretî heye ku ew nagihîjinê (nagihîjin

mebesta quretiya xwe). Vêca tu xwe bavê Xuda. Lewra bêguman ew her sehkir e baþ dibîne.

57.57Sond be aferandina asîmana û zemîn ji aferandina mirovan meztir e, lê belê pirrî mirovan nizanin.

58.58Ê kor û ê dibîne nabin yek; ên bawerî anîne û karên qenc kirine û ê xerab jî (nabin yek). Hûn çiqas hindik difikirin-þîret digrin.

59.59Bêguman danê qiyametê hey tê ku tu dudilî tê de nîne, lê belê pirrî mirovan bawer nakin.

60.60Perwerdekarê we got ku: "Hûn gazî min bikin ezê bersiva we bidim. Bêguman ên ku ji hebandina min quretî dikin wê bi sitûxorî têkevin dojehê."

61.61Xuda ye ê ku þevê ji we re çêkiriye ji bo ku hûn tê de bihêminin û royê jî rohnî kiriye. Bêguman Xuda li ser mirovan xwey qencî ye lê belê pirrî mirovan sipas nakin.

62.62Ev Xudayê han perwerdekarê we ye, aferandekarê her tiþtî ye, ji wî pêve tu Xuda nînin. Êdî hûn bi ku ve têne zivirandin?

63.63Ewên ku ayetên Xuda înkar dikirin wuha têne zivirandin.

64.64Xuda ye ê ku zemîn ji we re kiriye ciyê manê û asîman jî kiriye avahî û we kiriye xwedî sikûm, vêca sikûmên we pirr xweþik çêkiriye û ji tiþtê xweþ û pak rozî daye we. Ev Xudayê han perwerdekarê we ye. Vêca perwerdekarê aleman çi pîroz e.

65.65Ew zindiyê ku ji wî pêve tu Xuda nînin. Nexwe hûn ji dil gazî wî bikin-wî bihebînin dîn her jê re pak bidêrin. Pesn û sipas ji Xudayê perwerdekarê hemû aleman re ye.

66.66Tu bêje ku: "Bêguman ez çi gava delîlen xuya ji perwerdekarê min ji min re hatin û ez hatim ferman kirin ku ez serî ji perwerdekarê hemû aleman re deynim, ez hatim ferman kirin ku ez ewên hûn bêyî Xuda gazî wan dikin-wan dihebînin nehebînim."

67.67Ew e ê ku we ji axê paþê ji dilopek avik paþê ji xweyna terî hiþk aferandiye paþê we bi zarûkî (ji zikê dayîkên we) dertîne ji bo ku hûn bigihîjin hêza xwe paþê ji bo ku hûn pîr bibin; hin ji we jî berê dimrin û ji bo ku hûn bigihîjin demek (ecelek) navdayî û hêvî heye hûn hiþ tê bibin-xwe ragirin.

68.68Ew e ê ku vedijîne û dimirîne; vêca gava bivê karek biqedîne êdî tenê jê re dibêje: "Bibe", ew jî pêre pêre çêdibe.
69.69Ma tu ewên ku di ayetê Xuda de xirecirê dikin nabînî ku ew çewa têne zivirandin?
70.70Ewên ku kitêbe û tiþtê me pêxemberên xwe pê þandibû derewandine, vêca ewê paþê bizanbin.
71.71Dema qeyd û xelek di sitûyên wan de ne, ew têne kiþandin.
72.72Di ava kel de, paþê di agir de ew têne þewitandin.
73.73Paþê ji wan re tê gotin ku: "Ka li ku ne tiþtê we dikir þirîk.
74.74Bêyî Xuda?" Gotin ku: "Ew ji ber me hinda bûne. Ne, ji xwe me berê tu tiþtî nediheband." Xuda, kafiran wuha li hev þaþ dike.
75.75Evê han ji ber ku hûn bi neheqî di rûyê zemîn de dilþa dibûn û ji ber ku we quretiya dikir e.
76.76Hûn têkevin deriyê dojehê hertimî tê de bin; vêca ciyê qureyan çi nexweþ e!
77.77Vêca tu bîhna xwe fireh bike. Lewra bêguman wada Xuda rast e; êdî ya emê hin tiþtê em ji wan re wad dikin nîþanî te bidin yan jî emê te bimirînin, êdî ewê her bal me ve bêne vegerandin.
78.78Sond be me berî te gellek pêxember þandiye ku me hinek wan ji te re gotiye û me hinek wan jî ji te re negotiye. Bêyî destûra Xuda ji tu pêxemberî re nabe ku ayetek (ji kîsê xwe) bîne. Vêca gava fermana Xuda bê, bi rastiyê tê qedandin-hukim kirin û li wê der ehlê doza pûç ziyan dikin.
79.79Xuda ye ê ku dewara ji we re çêkiriye ji bo ku hûn li hinek wan siwar bibin û ji hinek wan bixwin.
80.80Û ji we re di wan de gellek kar hene û ji bo ku hûn li ser wan bigihên hewcetiyê di dile we de ne, û hûn li ser wan û li ser keþtiyê têne hilgirtin.
81.81Ew ayetên xwe nîþanî we dide, vêca hûn kîjan ayetên Xuda înkar dikin?
82.82Vêca ma qey ew li rûyê zemîn negeriyane ku binêrin ka paþiya ewên berî wan çewa bû, ku ew ji wan pirrtir û bihêztir û di rûyê zemîn de bi rêç û þop zêdetir bûn, lê tiþtê bi dest xistibûn tu bikêra wan nehat.
83.83Vêca çi gava pêxemberên wan bi delîlên xuya hatin wan, ew bi zanîna li cem xwe dilxweþ bûn û tiþtê pê tinaza kiribûn hawîdorê wan girt.

84. 84Vêca çi gava zora ezabê me dîtin gotin: "Me bi Xuda tenê bawerî aniye û em bi tiþtê me dikir þirîk kafir bûne."
85. 85Lê çi gava zora ezabê me dîtin êdî baweriya wan tu bikêra wan nehat. Rê û rêça Xuda ye ku di nav bendeyên wî derbas bûye. Ha li wê der kafiran ziyan kir.

## Chapter 41 (Sura 41)

1. 1Ha, Mîm.
2. 2Daxistinek hin bi hin ji (Xudayê) mihrîban î dilovan e.
3. 3Kitêbek e ku ayetên wê ji hev hatine veqetandinê, ji komelekî zana re Qur´anekî erebî ye.
4. 4Mizgînvan û hiþyarker e; vêca pirrî wan rû zivirand, êdî ew nabihîzin.
5. 5Û gotin ku: "Dilên me ji tiþtê tu me bal ve gazî dikî di perda de ye û di gohên me de giranî heye û di navbera me û te de perde heye, êdî tu bixebite, bêguman em jî xebatkar in."
6. 6Tu bêje ku: "Bêguman ez jî her mirovekî wekî we me ku bal min ve tê wehî kirin ku bêguman Xudayê we her Xudakî yekta ye, êdî hûn xwe bal ve rast bikin û jê bexþînê bixwazin. Xulî li serê pûtperestan be!"
7. 7"Ewên ku xwe bi yektaperestiyê ji pûtperestiyê pak nakin û ew bi axretê jî kafir in."
8. 8Bêguman ewên ku bawerî anîne û karên qenc kirine ji wan re xelatek bêkêmasî û bêdawî heye.
9. 9Tu bêje ku: "Ma hûn bera bi ewê ku zemîn di du rojan de aferandiye kafir dibin û jê re hemtayan çêdikin? Evê han perwerdekarê hemû alema ye.
10. 10Û li ser rûyê zemîn tê de çiyayên paydar çêkiriye û tê de firehî çêkiriye û tê de di çar rojan de zadê wan li wan parve kiriye; ji hemû hewcedaran re wekî hev bi pîvan daye.
11. 11Paþê bal asîman ve ku ew hê dû bû qesd kir vêca jê re û ji zemîn re got ku: "Hûn herdû bi dil yan bêdil werin." Herdûyan jî got ku: "Em bi dilê xwe tên."

12.12Vêca wî wan di du rojan de kir heft asîman û di her asîmanî de karê wî wehî kir. Me asîmanê dinê (jêrîn) jî bi (sitêrkên wekî) çirayan xemiland û me wan parast. Lihevanîn û pîvana (Xudayê) serkeftiyê zana eva haye.
13.13Êdî eger wan rûliba xist, vêca tu bêje ku: "Min we bi qêrîna (ezabek) wek qêrîna (ezabê) Ad û Semûd hiþyar kir-tirsand."
14.14(Di bîr bîne) dema pêxember, beriya wan û piþtî wan ji wan re hatin ku: Hûn ji Xuda pêve nehebînin, wan got ku: "Eger perwerdekarê me bixwestana wê feriþteyan daxistana. Vêca bêguman em bi tiþtê hûn pê hatine þandin kafir in."
15.15Vêca heçî Ad, wan bi neheqî di rûyê zemîn de quretî kir û gotin ku: "Ji me bihêztir kî heye?" Ma qey wan nedît ku bêguman Xudayê ku wan aferandiye ew ji wan bihêztir e? Wan ayetên me hey înkar dikir.
16.16Vêca me, di rojên bi peþk de bayekî pirr sar bi ser wan de þand; ji bo ku em di jîna dinê de ezabê rûreþiyê bi wan bidin tam kirin, lê ezabê axretê hê bi rûreþîtir e, û ew nayên yarî kirin jî.
17.17Û heçî Semûd jî êdî me wan da ser rêya rast lê wan korîtiyê di ser rêya rast re girt-hiz kir, êdî bi sedem tiþtê bi dest xistibûn ezabê riswatiyê wan girt.
18.18Me ewên bawerî anî bûn û ew xweparêz bûn jî rizgar kir.
19.19Roja dijminên Xuda bal agir ve têne civandin êdî ew (pêþî û paþiyên wan) bi hev têne gihandin.
20.20Heya gava ew tên gohên wan û çavên wan û çermên wan bi tiþtê kirine li ser wan danasî didin.
21.21Û ji çermên xwe re gotin ku: "We çima li ser me danasî da?" Wan got ku: "Xudayê ku her tiþtî daye axaftin me jî da axaftin tevî ku cara pêþî wî we aferand û hûnê her bal ve bêne vegerandin."
22.22We nikarbû hûn xwe veþêrin ku ne gohên we û ne çavên we û ne jî çermên we li ser we danasî bidin, lê belê we guman dikir ku bi rastî Xuda pirrî tiþtê hûn dikin nizane.
23.23Eva gumana we ya han ku we bi perwerdekarê xwe guman dikir, we têk bir; êdî hûn bûn ji ziyankaran.

24.24Vêca eger ew hewya xwe bînin, êdî agir þûna wan e, û eger bixwazin ku bal dilxwaziyê xwe ve bên vegerandin da ku qayil bibin, êdî ew nayên vegerandin ku qayil bibin.
25.25Me ji wan re hin hevalan bikar kir, vêca wan ji wan re tiþtê pêþiya wan û tiþtê paþiya wan xemiland û gotina (ezabê) ku di nav komelên ji cinn û mirovan ku berî wan derbas bûbûn li ser wan pêwist bû. Bêguman ew ziyankar bûn.
26.26Û ewên kafir bûne, gotin ku: "Hûn li vê Qur´ana han gohdarî nekin û hûn gotinê pûç û beredayî derbareê wê de bêjin hêvî heye ku hûn bi ser kevin."
27.27Vêca bi sond, emê ezabek zor dijwar bi ewên kafir bûne bidin tam kirin û emê wan bi pîstirê tiþtê dikirin bidin celat kirinê.
28.28Evê han celata neyarê Xuda agir e; ji wan re tê de warê hertimî mayînê heye, celatekî ye ji ber ku wan ayetên me înkar dikir.
29.29Ewên kafir bûne gotin ku: "Perwerdekarê me! tu ji cinn û mirovan wan herdûyê ku me ji rê þaþ kirin nîþanî me bide, emê wan têxin binê piyên xwe ji bo ku ew bibin ji wanê herî nizimketî."
30.30Bêguman wanê ku gotin: "Perwerdekarê me Xuda ye." Paþê xwe sere rast kirin, ew feriþte bi ser wan ve dadikevin ku: "Hûn netirsin û xemgîn jî nebin û hûn bi bihiþta ku hûn hatibûn wade dayîn mizgîn-dilþa bibin."
31.31"Em, di jîna dinê û di axretê de yar û yawerên we ne. Ji we re tê de tiþtê dilê we dibijê heye û ji we re tê de tiþtê hûn dixwazin heye."
32.32Mazûrvaniyek e ji (Xudayê) bexþendekarê dilovan.
33.33Ji kesê gazî bal Xuda ve dike û karê qenc pêk tîne û dibêje: "Bêguman ez ji musilmanan im" kî gotin rindtir e?
34.34Ne qencî û ne xerabî nabin yek. Tu, (xerabiya) bi a herî qenc biqewirîne; vêca ha tu dibînî ê ku di navbera te û wî de neyartî heye ew bûye herwekî dostekî germî nêz.
35.35Ji pêþtirê ewên bîhna fireh nîþan didin rastî vê nayên û ji pêþtirê ewê xwedan parek mezin e pergê vê nayên.
36.36Eger ji pelîd nepakîkî têkilî te bû, êdî tu xwe bavêje Xuda. Lewra bêguman ew her sehkirê zana ye.

37.37Þev û roj û ro û hîv tev ji ayetên (nîþanên) wî ne. Hûn ne ji royê re û ne jî ji hîvê re serî deynin. Eger hûn bera wî di hebînin hûn ji Xudayê ku wan aferandiye re serî deynin.
38.38Vêca eger wan quretî kir, êdî ên li cem perwerdekarê te ne, bi þev û bi roj wî (ji kêmasiyan) pak bêrî didêrin-limej dikin û ew nabetilin-nakerixin jî.
39.39Û ji ayetên wî ne ku tu zemîn hiþkbûyî dibînî, vêca gava me avê bi ser ve daxist, ew dilive û dinepixe (bi giya û çêrê bilind dibe). Bêguman ewê ku wê vejandiye ew miriyan jî vedijîne. Lewra bêguman ew bi her tiþtî dikare.
40.40Bêguman ewên ku ayetên me înkar dikin ew li ser me neveþarîne. Vêca ma roja qiyametê ê ku di agir de tê avêtin çêtir e yan ê biewle tê? Hûn tiþta divên bikin. Bêguman ew tiþtê hûn dikin dibîne.
41.41Bêguman ewên ku bi zikrê (Qur´anê) çi gava ji wan re hat kafir bûn, tevî ku ew bi rastî kitêbek birûmet e-parastî ye, (ewê bi kufra xwe bêne celat kirin).
42.42Ku ne ji pêþiya wê û ne ji paþiya wê tu pûçî û beredayîtî tevlî nabe; daxistinek hin bi hin ji (Xudayê) hîkmetdarê hêjayî pesn e.
43.43Ji pêþtirê tiþtê ku ji pêxemberên berî te re hatiye gotin ji te re nayê gotin. Bêguman perwerdekarê te xwedan bexþandin û xwedan ezabek bi jan e.
44.44Eger me wê bikirna Qur´anekî biyanî (ne bi zimanê erebî bûna) wê bigotina: "Ma çima ayetên wê ji hev nehatine veqetandin (bi zimanê erebî nehatiye daxuyandin?) Ma (ew kitêb) biyanî û (pêxember jî) erebî ye?" Tu bêje ku: "Ew ji ên bawerî naynin di gohên wan de giranî-kerrîtî heye û ew li ser wan korîtî ye. Ewên han ji ciyekî dûr têne gazî kirin."
45.45Sond be me kitêbê da Mûsa, vêca tê de dubendî hate çêkirin. Eger ne ji peyvekî ku ji perwerdekarê te derbas bûye bûna, wê di navbera wan de bihata hukim kirin. Bêguman ew hey tê de di bedgumaniyek dudilî de ne.
46.46Kî karekî qenc bike, êdî ew ji xwe re dike û kî xerabî jî bike êdî ew ji xwe re dike. Perwerdekarê te ji bendeyan re qet ne sitemkar e.
47.47Zanîna danê qiyametê her bal ve tê vegerandin. Her fêkiyên ji kumikên xwe dertên; her mêyên tiþtê hildigrin (badar dibin û barê xwe) datînin tenê bi zanîna wî ye. Roja gazî wan bike ku: "Kanê þirîkên min?" , ew dibêjin ku: "Me bi te daxuyandiye ku tu danasek ji me nîne."

48. 48Tiþtê berê dihebandin ji ber wan hinda bûn û baþ zanîn ku ji wan re tu ciyê revê nîne.
49. 49Mirovê (kafir) qet ji xwestina xweþî (û malê pirr) nabetile-nakerixe. Eger nexweþîkî têkilê wî bibe, vêca ew bêhêviyê bêumîd dibe.
50. 50Sond be eger em, piþtî ku nexweþî gihîþtiyê dilovaniyek ji xwe pê bidin tam kirin, ewê bêje ku: "Evê han ji min e, û ez guman nakim ku qiyamet rabe; û eger ez bal perwerdekarê xwe ve bême vegerandin, bêguman ji min re li balê a herî rind heye." Vêca bi rastî emê ewên kafir bûne bi tiþtê kirin haydar bikin û emê hey ji ezabê sitûr bi wan bidin tam kirin.
51. 51Û gava em li mirovê (kafir) qencî bikin, ew rû dizivrîne û xwe li alîkî liba dike-tu paxavê pê nake û gava nexweþîkî digihîjê vêca ew dibe xwey lavahiyê dûm û dirêj.
52. 52Tu bêje ku: "Ka binêrin! eger ew (Qur´an) ji cem Xuda be, paþê hûn pê kafir bibin, ka ji ê ku di neyartîkî dûm û dirêj de be rê þaþtir kî heye?" (Eger hûn pê kafir bibin ji we rê þaþtir û ji rastiyê dûrtir kî heye?).
53. 53Emê ji nêz ve ayetên (nîþanên) xwe di asoyan de û di wan bi xwe de jî nîþanî wan bidin heya ji wan ve baþ xuya dibe ku ew (Qur´an) bera rast e. Ma qey ji perwerdekarê te re (ev) bes nîne ku bi rastî ew danasê li ser her tiþtî ye?
54. 54Hay jê bin! bêguman ew ji rasthatina perwerdekarê xwe di dudiliyê de ne. Hay jê bin! bêguman wî hawîdor li hemû tiþtî girtiye.

## Chapter 42 (Sura 42)

1. 1Ha, Mîm.
2. 2Eyn, Sîn, Qaf.
3. 3Bal te ve û bal ên berî te ve wuha wehî dike. Serkeftiyê hîkmetdar her Xuda ye.
4. 4Tiþtê di asîmana û tiþtê di zemîn de ê wî ne. Bilindê herî mezin her ew e.
5. 5Hin dimîne asîman (ji meznaya Xuda) ji ser wan ve biqeliþin û feriþte jî bi pesn û sipasê perwerdekarê xwe limêj dikin-wî (ji kêmasiya) pak berî didêrin û ji ên di rûyê zemîn de ne re bexþînê dixwazin. Hay jê bin! bêguman bexþendekarê dilovan her Xuda ye.

6. 6Ewên ku bêyî Xuda ji xwe re yar û yawer girtine, Xuda li ser wan parêzvan e (kirinê wan dihêle ji bo ku wan pê celat bike). Tu li ser wan ne dîdevan î.
7. 7Her wuha me Qur´anek erebî bal te ve wehî kir ji bo ku tu dayîka bajaran (Mekkê) û ên dora wê hiþyar bikî-bitirsînî û tu (wan) bi roja civînê (qiyametê) ku tu dudilî tê de nîne hiþyar bikî-bitirsînî. Birrek di bihiþtê de ne û birrek jî di dojehê de ne.
8. 8Eger Xuda bixwesta, wê wan bikirna yek komek, lê belê ê bixwaze dike dilovaniya xwe; ên sitemkar jî, ne ji wan re yar û yawer hene û ne jî alîkar.
9. 9Ma qey wan bêyî wî hin yar û yaweran girtiye? Vêca her Xuda yar û yawer e; ew miriyan vedijîne û ew bi her tiþtî dikare.
10. 10Her tiþtê hûn tê de bi hev ketin, êdî hukmê wî bal Xuda ve ye. Ev Xudayê han perwerdekarê min e; min her xwe sipartiye wî û ez her balê ve vedigerim.
11. 11Aferandekarê asîmana û zemîn e; ji we bi xwe cotan (nêr û mê) û ji dewaran jî cotan (nêr û mê) çêkiriye we tê de diaferîne (dide jiyandin û pirr dike). Tu tiþt wekî manendê wî nîne. Sehkirê baþ dibîne her ew e.
12. 12Miftê gencîneyê asîman û zemîn her ê wî ne; ji kesêbixwaze re rozî fireh dike û teng dike. Bêguman ew zanayê bi her tiþtî ye.
13. 13Ji we re ji dîn tiþtê Nûh pê þîret kiriye û tiþtê me bal te ve wehî kiriye û tiþtê Îbrahîm û Mûsa û Îsa pê þîret kirine, daxuyandiye ku: "Hûn dîn rast bikin-li piya bihêlin û tê de bi hev nekevin-dubendiye çênekin. Tiþtê tu, pûtperestan bal ve gazî dikî pirr mezin e-li zora wan diçe. Xuda, kî bixwaze balê ve hildibjêre û kesê vegere, balê ve rêberî dike.
14. 14Ew ji piþtî ku zanîn ji wan re hat ji ber dexesiya di nav wan de bi hev ketin-ji hev perçe perçe bûn. Eger ne ji ber peyvekî ku ji perwerdekarê te heya demek navdayî derbas bû, bûna, wê di navbera wan de bihata hukim kirin. Bêguman ên ku piþtî wan bûn mîratxwirê kitêbê, ew jê di bedgumaniyek dudilî de ne.
15. 15Vêca tu (wan) gazî bal evê han bike û tu çewa têyî ferman kirinê xwe rast bike û tu nede pey hewesên wan; û tu bêje ku: "Min bi tiþtê Xuda ji kitêbê daxistiye bawerî aniye û ez hatime ferman kirinê ku ez di navbera we de bi dadmendî (bi edalet) tevbigerim. Xuda perwerdekarê me û perwerdekarê we ye. Kirinên me ji me re ne û kirinên we jî ji we re ne. Tu xirecir û neyartî

di navbera me û we de nîne. Xuda, wê nava me bicivîne. Veger her bal wî ve ye."

16.16Êwên ku derbareê Xuda de ji piþtî ku jê re bersiv hatiye dayîn lecbazî-neyartî dikin, ew neyartiya wan li cem perwerdekarê wan pûç û bereday e, û xeþmek li ser wan e û ji wan re ezabek zor dijwar heye.

17.17Xuda ye ê ku kitêb û mêzînê bi rastiyê daxistiye. Çi gihaye te? dibe ku danê qiyametê nezîk be.

18.18Ewên ku pê bawerî naynin pê dilezînin. Ewên ku bawerî anîne ew jê dilbitirs in û dizanin ku bêguman ew rast e. Hay jê bin! bêguman ewên ku derbareê danê qiyametê de dudilî dikin ew di þaþîtîkî dûr de ne.

19.19Xuda bi bendeyên xwe qencîkar e, kî bixwaze rozî dideyê. Hêzdarê herî serkeftî her ew e.

20.20Kî kar û xebata ji axretê re bixwaze emê jê re di kar û xebata wî de pirr bikin. Kî jî kar û xebata dinê bivê emê jê bidinê û di axretê de jê re tu par nîne.

21.21Qey ji wan re hin þirîk hene ku ji wan re dînakî ku Xuda pê destûr nedaye derxistin? Eger ne ji ber peyva jihevveqetandinê bûna, wê di nabera wan de bihatana hukim kirin. Bêguman sitemkar ji wan re ezabekî bi jan heye.

22.22Tu sitemkaran dibînî ku ew ji tiþtê bi dest xistine dilbitirs in, ewê jî bi wan de bê. Ewên ku bawerî anîne û karên qenc kirine, di baxçê bihiþtan de ne; ji wan re li cem perwerdekarê wan tiþtê dixwazin heye. Qenciya herî mezin her eva haye.

23.23Evê han e ê ku Xuda bendeyên xwe yên ku bawerî anîne û karên qenc kirine pê mizgîn dike. Tu bêje ku: "Ez, ji ber merivê we me ji hizkirina xwe pêve tu destmuzî li ser (doza xwe) ji we naxwazim. Kî qencîkî bi dest bixe emê jê re tê de qencî pirr bikin. Bêguman Xuda bexþendekar e sipaskar e.

24.24Yan qey ew dibêjin ku: "Wî derewa nebûyî avêtiye ser Xuda? Vêca eger Xuda bixwaze wê ser Xuda (pûtperestiya) pûç û beredayî radike û rastiyê bi peyvên xwe bi cîh dike. Bêguman ew zanayê bi veþariyê di singan de ye.

25.25Ew e ê ku poþmaniyê ji bendeyên xwe dipejirîne û li nebaþiyan dibore; tiþtê hûn dikin dizane.

26.26Û bersiva ên bawerî anîne û karên qenc kirine dide û qenciya xwe ji wan re pirr dike. Kafir jî ji wan re ezabekî zor dijwar heye.

27.27Eger Xuda, roziyê ji bendeyên xwe re berfireh raxistina wê wan di rûyê zemîn de tadê bikirna, lê belê ew biqasî dixwaze hin bi hin dadixe. Lewra bêguman ew bi bendeyên xwe kûr zana ye baþ dibîne.
28.28Ew ê ku piþtî ew bêhêvî bûn, baranê dadixe û dilovaniya xwe belav dike. Dostê hêjayî pesn her ew e.
29.29Aferandina asîmana û zemîn û rawirê di nava wan de belav kiriye ji ayetên (nîþanên) wî ne. Ew gava bixwaze dikare wan li hev bicivîne.
30.30Her belayê bi serê we de tê ew bi sedem keda destên we ye, û ew li pirrî (nebaþiyan) jî dibore.
31.31Hûn di rûyê zemîn de, ne bêzarker in û ne jî ji Xuda pêve ji we re yar û alîkar hene.
32.32Keþtiyên wek çiyayan ku di derya de diherikin jî ji ayetên (nîþanên) wî ne.
33.33Eger ew bixwaze wê ba bisekinîne, vêca wê ew (keþtî) li ser piþta wê sekinandî bimînin. Bêguman di vî de ji her bîhnfirehê sipaskar re gellek ayet (nîþan) hene.
34.34Yan wê wan tiþtê bi dest xistine têk bibe-bifetisîne û ew li pirrî (tewþiyan) jî dibore.
35.35Ewên ku di ayetên me de xirecirê dikin baþ dizanin ku ji wan re tu ciyê revê nîne.
36.36Vêca tiþtê ji we re hatiye dayîn, ew xweþiya jîna dinê ye û tiþtê li bal Xuda ji ên bawerî anîne û her xwe sipartine perwerdekarê xwe re çêtir e û mayînîtir e.
37.37Û ewên ku xwe ji gunehên mezin û nepakiyan dûr digrin û gava hêrs bibin jî ew dibexþînin .
38.38Û ewên ku bersiva perwerdekarê xwe dane û limêjê rast kirine û karê wan di nav wan de bi þêwrê ye û ew ji tiþtê me rozî daye wan didin.
39.39Û ewên ku gava tadekî li wan dibe ew yariya hevûdin dikin.
40.40Cezayê nebaþiyê wekî wê nebaþî ye. Vêca kî têbibore û qencî bike, êdî xelata wî li ser Xuda ye. Lewra bêguman ew ji sitemkaran hiz nake.
41.41Kî piþtî tade lê hat kirin, bê yarî kirinê, êdî ewên han tu rê li ser wan nîne.
42.42Lewra bêguman rê tenê li ser ên ku li mirovan tadê dikin û bi neheqî di rûyê zemîn de serkêþî dikin heye. Ewên han ji wan re ezabekî bi jan heye.

43.43Lê kî bîhna fireh nîþan de û bibexþîne, bêguman evê han ji karên girang e.
44.44Xuda, kî ji rê þaþ bike êdî piþtî wî jê re tu yar û yawer nîne. Tu, sitemkaran jî dibinî çi gava ew ezab dibînin dibêjin ku: "Ma gelo tu rêya vegerê nîne?"
45.45Û tu, wan dibinî ku ew li ser (agir) têne pêþkêþ kirin, ew ji riswatiyê dilbitirs in-sitûxor in di binê çavan re-bi çavekî zebûn dinêrin. Ewên bawerî anîne gotin ku: "Bêguman ziyankar her ew in ku roja qiyametê xwe û malbata xwe hinda kirine." Hay jê bin! bêguman sitemkar di ezabekî hertimî de ne.
46.46Ji Xuda pêve ji wan re tu yar û yawer jî nînin ku yariya wan bikin. Xuda, kî ji rê þaþ bike êdî jê re tu rê jî nînin.
47.47Hûn berî rojekî bê ku jê re ji Xuda tu veger nîne, bersiva perwerdekarê xwe bidin; wê rojê ji we re, ne ciyê hûn xwe pê bigrin heye û ne jî ji we re hêz û alîkarek ku we veþêre heye.
48.48Vêca eger ew rû bizivrînin, êdî me te li ser wan parêzvan neþandiye. Li ser te tenê ragihandin heye. Bêguman em, gava dilovaniyek ji xwe bi mirov didin tam kirin ew pê kêfxweþ dibe. Lê eger nebaþîkî bi sedem keda destên wan bê serê wan, êdî bi rastî mirov zor nankor e.
49.49Mulkê asîmana û zemîn ê Xuda ye. Tiþtê bixwaze diaferîne; ji kî re bivê keçan bibexþîne û ji kî re bive kuran dibexþîne.
50.50Yan kur û keç cot dide wan; kî jî bivê wareþ çêdike. Bêguman ew zana ye pêkar e.
51.51Ji tu mirovî re nabe ku Xuda (rû bi rû) pê re bipeyive, tenê bi wehyê yan ji piþt perdê ve yan jî qasidek biþîne, êdî ew bi destûra wî tiþtê bivê wehî bike. Bêguman ew pirr bilind e hîkmetdar e.
52.52Her wuha me rewanek (can Qur´anek) ji fermana xwe bal te ve wehî kir. Te berê ne dizanibû kitêb çiye û ne jî bawerî; lê belê me wê kir ronahiyek ku em ji bendeyên xwe ê bixwazin pê didin ser rêya rast. Bêguman tu jî bal rêya rastîn ve gazî dikî.
53.53Rêya Xuda yê ku tiþtê di asîmana û tiþtê di zemîn de tev ê wî ne. Hay jê bin! hemû kar her bal Xuda ve vedigerin.

## Chapter 43 (Sura 43)

1. 1Ha, Mîm.
2. 2Bi kitêba aþîkar.
3. 3Bêguman me wê kiriye Qur´anek erebî hêvî heye ku hûn hiþ tê bibin-xwe ragirin.
4. 4Û bêguman ew li cem me di dayîka kitêban de pirr bilind e hîkmetdar e.
5. 5Vêca ma qey li ber ku hûn komelekî ji hedderketî ne (pûtperest in) emê bi tevayî dev ji we berdin (we li ser kufra we bihêlin ezab) bi bîra we nexin?
6. 6Me di nav peþîyan de çiqas pirr pêxember þandiye!
7. 7Her pêxemberê ji wan re dihat wan hey pê tinaza dikir.
8. 8Vêca me ên ji wan bihêztir têkbir û mînaka pêþiyan derbas bû.
9. 9Sond be eger tu ji wan bipirsî ku: "Kî asîmana û zemîn aferandiye?" wê bêjin ku: "(Xudayê) serkeftiyê zana wan aferandiye."
10. 10Ewê ku zemîn ji we re kiriye dergûþ û ji we re tê de rêya çêkiriye hêvî ku hûn rêya xwe bibînin.
11. 11Ewê ku ji asîman avê bi pîvan daxistiye, vêca me pê welatekî mirî vejand; hûnê jî wuha bêne derxistinê.
12. 12Ewê ku cota teva aferandiye û ji we re ji keþtiyan û dewaran tiþtê hûn lê siwar dibin çêkiriye.
13. 13Ji bo ku li piþta wan rast (siwar) bibin, paþê gava hûn li ser wan rast (siwar) bûn, hûn qenciyê perwerdekarê xwe di bîr bînin û bêjin: "Pak bêrî ye ê ku eva ji me re sitûxor kiriye û me bi xwe qet pê nikarbû."
14. 14"Û bêguman emê her bal perwerdekarê xwe ve vegerin."
15. 15Wan jê re ji bendeyên wî parek (ji zarûyan) çêkir. Bêguman mirov nankorekî aþîkar e.
16. 16Ma wî ji tiþtê diaferîne keçan ji xwe re girtiye û kuran jî ji we re hilbijartiye?
17. 17Gava yek ji wan bi tiþtê ji (Xudayê) Mihrîban re mînak dide (bi keçan) tê mizgin dayîn, rûyê wî reþûtankî dibe û ew hêrsa wî di gewriya wî de dimîne.
18. 18Ma ew (keç)ên ku di nav xiþr û xemle de têne mezin kirin û ew di xirecira de jî (delîla xwe bi hêsanî nikare) diyar bike (ji Xuda re dikin hevpar?)

19. 19Û wan, feriîteyên ku bendeyê (Xudayê) Mihrîban in kiriye pîrek. Ma ew danasê aferandina wan bûn? Ewê danasiya wan bê nivisandin û wê bêne pirsyarî kirin.
20. 20Û gotin ku: "Eger (Xudayê) Mihrîban nexwestana me wan nediheband." Tu zanîna wan bi vî nîne. Ew hey derewa dikin.
21. 21Ma qey me berê wî ketêbek daye wan, vêca ew xwe pê digrin?
22. 22Ne, (me tu kitêb nedaye wan) gotin ku: "Bêguman me bav û kalên xwe li ser dînekî dît û bi rastî em jî li ser þopa wan rêya xwe dibînin."
23. 23Her wuha me berî te her hiþyarkerê di welatekî de þand her serdestên wan gotin ku: "Bêguman me bav û kalên xwe li ser dînekî dîtiye û bi rastî em peyrewê þopa wan in."
24. 24(Her pêxemberî) got ku: "Ma eger min (rêyekî) rasttir ji tiþtê we bav û kalên xwe li serê dîtiye anîbe (hûnê dîsa li pey wan herin?)" Wan got ku: "Bêguman em bi tiþtê tu pê hatî þandin kafir in."
25. 25Vêca me heyf ji wan sitend, êdî tu binêre ka paþiya ên di derewandin çewa bû?
26. 26(Di bîr bîne) dema Îbrahîm ji bavê xwe û gelê xwe re got ku: "Bêguman ez ji tiþtê hûn dihebînin bêrî me."
27. 27"Ji pêþtirê ê ku min aferandiye; êdî bêguman ewê min rêberî bike."
28. 28Wî, wê (gotinê) di pey xwe re kir peyvekî hermayî, hêvî heye ku ew vegerin.
29. 29Bi rastî min jî vanê han û bav û kalên wan bi xweþî jiyand heya ku (Qur´an) a rast û pêxemberê diyarker ji wan re hat.
30. 30Çi gava rastî ji wan re hat gotin ku: "Evê han efsûn e û bêguman em pê kafir in."
31. 31Û gotin ku: "Ma çima ev Qur´ana han li ser zilamekî mezin ji herdû bajaran (Mekke û Taif) nehatiye daxistin?"
32. 32Ma qey dilovaniya perwerdekarê te ew parî dikin? Me roziya jiyana wan di jîna dinê de di nav wan de parî kiriye û me hina ji wan di ser hina re bi payeyan bilin kiriye, ji bo ku hin ji wan hina ji xwe re bindest bigrin-bixebitînin. Dilovaniya perwerdekarê te ji tiþtê ew dicivînin çêtir e.

33.33Eger ne ji ber ku wê mirov (tev li ser kufrê) bibûna yek komek, me yê ji ê ku bi (Xudayê) Mihrîban kafir dibe re, hin xaniya çekirna ku banê wan û pêplûkên wan ji zîv bûna, ew li ser wan bilind bibûna.
34.34Û ji xaniyên wan re hin deriyên (ji zîv) û textên (ji zîv meyê çêkirna ku) li ser wan pal bidana.
35.35Û (me yê) xiþr û zêr jî (bidana wan). Evê han hemû xweþiya jîna dinê ye. Axret jî li cem perwerdekarê te ji xweparêzan re ye.
36.36Kî ji þîretê (Xudayê) Mihrîban rû bizivrîne-çavkorîtiya bike, emê jê re pelîdekî girêdin-lê bikin moz û êdî ew jê re heval e-hew jê diqete.
37.37Bêguman ew (pelîd) wan ji rê liba dixin û ew guman dikin ku ew bera li ser rêya rast in.
38.38Heya gava tê ba me, dibêje: "Hey xwezî di navbera min û te de dûrahiya rojhelat û rojava hebûna! vêca tu çi hevalekî pîs î!"
39.39Ji ber we sitemkarî kiriye, hevparbûna we di ezab de îro qet bikêra we nayê.
40.40Vêca ma qey tê bi ê kerr bidî seh kirin yan tê ê kor û ê ku di þaþîtîkî xuya de ye rêberî bikî?
41.41Êdî eger em te bivin herin, vêca bêguman em ji wan heyfsitan in.
42.42Yan emê tiþtê me bi wan wade daye nîþa te bidin. vêca bêguman em li ser wan bihêz in-pêkar in.
43.43Vêca tu bi tiþtê bal te ve hatiye wehî kirinê xwe bigre. Bêguman tu li ser rêya rastîn î.
44.44Û bêguman ew (Qur´an) ji te re û ji komela te re þîret e-bîrxistin e. Hûne paþê bêne pirsyarî kirin.
45.45Tu ji pêxemberên me berî te þandiye bipirse ku: Ka me ji (Xudayê) Mihrîban pêve hin Xudayên ku têne hebandin çêkiriye?
46.46Sond be, me Mûsa bi ayetên (nîþanên) xwe þand bal Fîr´ewn û koma gire girên wî; vêca got ku: "Bêguman ez qasidê perwerdekarê hemû alema me."
47.47Vêca çi gava ew bi ayetên (nîþanên) me hate wan, ew pêre pêre bi wan keniyan.
48.48Her ayeta me nîþa wan dida ew her ji a hevala xwe meztir bû; me wan bi ezab girt; hêvî heye ku ew vegerin.

49.49Wan (dema ezab dît) gotin ku: "Efsûngerê zana! tu ji me re ji perwerdekarê xwe bi tiþtê li cem te peyman daye, lava bike. Lewra bêguman em li ser rêya rast in."
50.50Vêca çi gava me ezab ji wan rakir, wan pêre pêre (ehda xwe) diþikand-nedianîn cîh.
51.51Fîr´ewn di nav komela xwe de gazî kir ku: "Gelê min! ma mulkê Misrê, ne ê min e û ev çemên han ji binê (koþkên) min naherikin? Vêca ma qey hûn nabînin?"
52.52"Ma qey ez ji vî yê han ku ew rebeneke û nikare (mebesta xwe) diyar bike çêtir nînim?"
53.53"Vêca çima bazinên zêrîn li serê nehatine avêtin yan pêre feriþte bi hevaltî nehatin?"
54.54Vêca wî komela xwe sivik girt, êdî wan jî dane pey wî. Bêguman ew komelekî jirêderketî bûn.
55.55Vêca çi gava wan me hêrs kir, me heyf ji wan sitend, êdî me wana tev fetisand.
56.56Vêca me wan ji paþîniyan re kir pêþîn û mînak.
57.57Çi gava kurê Meryemê mînak tê dayîn, komela te pêre pêre jê acis dibin-rû liba dixin.
58.58Û gotin ku: "Ma Xudayên me çêtir in yan ew?" Wan hey ji bo xirecirê wî ji te re mînak dan; ji xwe ew komelekî dijber in.
59.59Ew tenê bendekî ye ku me pê qencî kiriye û me wî ji zariyê Îsraîl re kiriye mînak.
60.60Eger me bixwesta, me yê di rûye zemîn de ji we feriþteyan çêkirna ku bibûna caniþîn.
61.61Bêguman ew (Îsa kurê Meryemê) ji danê axretê re zanîn e-nîþan e. Êdî hûn tê de xirecirê nekin û bidin pey min. Rêya rastîn eva haye.
62.62Bira pelîd we qet (ji vê rêya rast) para nehêle. Lewra bêguman ew ji we re neyarek aþîkar e.
63.63Çi gava Îsa bi delîlên xuya hat got ku: "Bi rastî ez ji we re bi hîkmetê hatime û ji bo ku ez hin tiþtê hûn tê de bi hev dikevin ji we re diyar bikin. Vêca hûn xwe ji Xuda biparêzin û bidin pey min."

64.64"Bêguman Xuda, ew perwerdekarê min û perwerdekarê we ye; êdî hûn wî bihebînin. Rêya rastîn eva haye."
65.65Vêca partî ji nav xwe bi hev ketin. Êdî ji ezabê rojekî bi jan xulî li ewên sitemkarî kirine be.
66.66Ma ew li bendê ne ku danê axretê ji niþkav de bêyî haya wan jî hebe ji wan re were?
67.67Wê rojê dost, ji xweparêzan pêve hin ji wan ji hina re neyar in.
68.68Gelî bendeyên min! îro ne tirs li ser we heye û ne jî hûn xemgîn dibin.
69.69Ewên ku bi ayetên me bawerî anîne û ew musilman bûne.
70.70Hûn têkevin bihiþtê; hûn û jinên xwe bi xweþî têne mazûrvanî kirin.
71.71Bi kasik û þerbikên zêrîn li ser wan tê gerandin. Tê de tiþtê dil dibijinê û çav xweþ dibînin heye, û hûn hertimî tê de dimînin.
72.72Ev bihiþta han e ku hûn bi xebata xwe bûne miratxwirê wê.
73.73Ji we re tê de gellek fêkî hene ku hûn jê dixwin.
74.74Bêguman sûcdarên gunehkar di ezabê dojehê de hertimî dimînin.
75.75Ew (ezab) ji wan nayê sist kirin û ew tê de bêhêvî ne.
76.76Me li wan tadê nekiriye, lê belê ew bi xwe sitemkar bûn.
77.77(Ehlê dojehê) gazî kirin ku: "Maliko! bira perwerdekarê te li ser me hukim bike-me bimirîne." (Dergevan) got ku: "Bêguman hûnê tê bimînin."
78.78Sond be me rastiyê ji we re anî, lê belê pirrî we bi rastiyê dilnexweþ in.
79.79Ma qey wan biryara karekî zexm daye? Vêca bêguman me jî biryar daye.
80.80Yan ew guman dikin ku bera em razê wan û hevpeyvîna wana bi dizî nebihîzin? Çewa (em dibihîzin) û qasidên me jî li cem wan in dinivsînin.
81.81Tu bêje ku: "Eger ji (Xudayê) Mihrîban re zarû hebûna, vêca ezê pêþiyê perestvanan bûna ma."
82.82Perwerdekarê asîmana û zemîn, perwerdekarê textê (mezin) ji tiþtê ew salix didin pak bêrî ye.
83.83Vêca tu dev ji wan berde bira ew (di nebaþiyên xwe de) noq bibin û bileyzin heya ku ew rastî roja xwe ya ku têne wade dayîn tên.
84.84Ew e ê ku di asîman de Xuda ye û di zemîn de Xuda ye. Hîkmetdarê zana her ew e.
85.85Û pak pîroz e ê ku mulkê asîmana û zemîn û tiþtê di nav wan de ê wî ye; û zanîna danê qiyametê li cem wî ye û hûnê her bal wî ve bêne vegerandin.

86.86Ewên ku ew bêyî wî gazî dikin tu mehdervanî di destê wan de nîne; ji pêþtirê ê ku bi rastiyê danasî bide û ew bizanbin.
87.87Sond be, eger tu ji wan bipirsî ku: Kî wan aferandiye? Wê bêjin: "Xuda." Vêca ew çewa têne zivirandin?
88.88Û (zanîna) gotina wî ku (got:) "Perwerdekarê min! bêguman evên han komelekî ne ku bawerî naynin" (jî li cem Xuda ye).
89.89Êdî tu rû ji wan bizivrîne û bêje: "Silav (xweþî ji we re be)"; veca wê paþê bizanbin.

## Chapter 44 (Sura 44)

1. 1Ha, Hîm.
2. 2Bi kitêba aþîkar.
3. 3Bêguman me wê di þevekî pîroz de daxistiye; bêguman em hey hiþyarker in.
4. 4Her karê hîkmetdar di wê (þevê) de ji hev tê veqetandin.
5. 5Karekî ji cem me. Bêguman em hey (pêxemberan) diþînin.
6. 6Dilovaniyek ji perwerdekarê te ye. Bêguman ew, sehkirê zana her ew e.
7. 7Eger hûn ji dil bawer in (ew) perwerdekarê asîmana û zemîn û tiþtê di nava wan de ye.
8. 8Ji wî pêve tu Xuda nînin; vedijîne û dimirîne. Perwerdekarê we û perwerdekarê bav û kalên we pêþîn e.
9. 9Ne, ew di dudiliyê de dileyizin-pê tinaza dikin.
10. 10Êdî tu li benda wê rojê be ku asîman dûyekî xuya tîne.
11. 11Ew mirovan radipêçe. Evê han ezabekî bi jan e.
12. 12(Gotin:) "Perwerdekarê me! tu ezab ji me rake, bêguman em bawermend in."
13. 13Çewa ew þîret digrin, tevî ku pêxemberek xuya ji wan re hatiye?
14. 14Paþê wan jê rû zivirand û gotin ku: "Hînbûyekî dîn e."
15. 15Bêguman emê hinekî ezab rakin, bi rastî hûnê (dîsa) vegerin.
16. 16(Di bîr bîne) roja ku emê bi girtina herî mezin (wan) bigrin; bêguman em heyfsitan in.

17.17Sond be me berî wan komela Fir´ewn jî sihêtî kir û pêxemberek birûmet ji wan re hat.
18.18(Û gote wan:) "Ku divê hûn bendeyên Xuda (zariye Îsraîl) bispêrin min. Bêguman ez ji we re pêxemberek pêbawer im."
19.19"Û ji bo ku hûn nebûya navên ser Xuda-li hember wî ranebin. Bêguman min ji we re delîlek xuya aniye."
20.20"Û bi rastî min xwe avêtiye perwerdekarê xwe û perwerdekarê we ku hûn min kevirbaran nekin."
21.21"Eger hûn ji min bawer nekin jî, êdî hûn dev ji min berdin."
22.22Vêca gazî perwerdekarê xwe kir ku: "Bêguman evên han komelekî sûcdarên gunehkar in."
23.23Vêca (Xuda gotê ku:) "Tu bi þev bi bendeyên min re bi rê keve; bêguman hûnê bêne peyketin."
24.24"Û tu deryayê hêdî bihêle û here. Lewra bêguman ew leþkerekî fetisandî ne."
25.25Wan çiqas bax û baxçe û kanî (li pey xwe) hiþt.
26.26Û gellek zevî û ciyên rind.
27.27Û xweþiyên ku ew tê de kêfxweþ bûn.
28.28Me komelekî din wuha kir mîratxwirên wan.
29.29Vêca ne asîman li ser wan giriya û ne jî zemîn, û li benda wan jî nehate mayîn.
30.30Sond be, me zariyê Îsraîl ji ezabê riswaker rizgar kir.
31.31Ji Fir´ewn Lewra bêguman ew zordarekî ji hedderketiyan bû.
32.32Sond be, me wan bi zanîn di ser gelê cîhanê re girt-hilbijart.
33.33Û me hin nîþanan da wan ku tê de xweþîkî xuya hebû.
34.34Bêguman evên han dibêjin:
35.35"Ku ji mirina me ya pêþîn pêve tu tiþt nêne û em (piþtî mirinê jî) nayên rakirin."
36.36"Vêca eger hûn bera rastgo ne de ka bav û kalên me bînin."
37.37Ma ew çêtir in (bihêztir in) yan komela Tubbe´ , û ên berî wan ku me wan têk bir. Lewra bêguman ew sûcdarên gunehkar bûn.
38.38Me asîmana û zemîn û tiþtê di nava wan de bi leystik neaferandiye.
39.39Me wan her bi rastiyê aferandiye, lê belê pirrî wan nizanin.

40. 40Bêguman roja ji hev veqetandinê wextê wada wan teva ye.
41. 41Roja ku tu merivê nêz bi kêra merivê xwe nayê û ew neyên yarî kirin jî.
42. 42Ji pêþtirê ê ku Xuda lê dilovanî kiribe. Lewra bêguman ew, serkeftiyê dilovan her ew e.
43. 43Bêguman dara ziqûmê-keratiyê,
44. 44Xwarina gunehkaran e.
45. 45Wekî qîra kelandî ye ku di zikan de dikele.
46. 46Wekî ava kelandî.
47. 47(Gelî zebaniyan!) hûn wî bigrin, êdî hûn wî bi zorê biþînin nava dojehê.
48. 48Paþê hûn jiezabe germ bi ser serî wî de birêjin.
49. 49Tu tam ke. Lewra bêguman tu (di dilê xwe de) serdestekî birûmet bû yî.
50. 50Bêguman evê haye tiþtê we pê xirecirê dikir.
51. 51Bêguman xweparêz jî di ciyekî biewle de ne.
52. 52Di nav bax û baxçe û kanyan de ne.
53. 53Ew jihevrîþimê tenik û qalind li xwe dikin; li hember hev rûniþtî ne.
54. 54Her wuha ye, û me wan bi (jinên) çav belek re daye zewicandin.
55. 55Ew tê de biewletî ne ji her fêkiyî dixwazin.
56. 56Ew tê de ji mirina pêþîn pêve tu mirinê tam nakin; û (Xuda) wan ji ezabê dojehî parastiye.
57. 57Qencîkî ji perwerdekarê te ye. Rizgariya mezin her eva haye.
58. 58Vêca bêguman me wê (Qur´anê) bi zimanê te hêsan kir, hêvî heye ku ew bifikirin-þîret bigrin.
59. 59Vêca tu li bendê be; bêguman ew jî li bendê ne.

## Chapter 45 (Sura 45)

1. 1Ha, Mîm.
2. 2Daxistina kitêbê hin bi hin ji Xudayê serkeftiyê hîkmetdar e.
3. 3Bêguman di asîmana û zemîn de ji bawermendan re gellek ayet (nîþan) hene.
4. 4Ji komelekî jidilbawer re di aferandina we û rawirên ku belav kiriye de jî gellek ayet (nîþan) hene.

5. 5Û ji komelekî hiþ tê dibin re di guherîna þev û rojê û roziya (ava) ku Xuda ji asîman daxistiye vêca pê zemîn piþtî mirina wê vejandiye, û guherîna bayan de jî gellek ayet (nîþan) hene.
6. 6Evên han ayetê Xuda ne ku em wan bi rastiyê li ser te dixweynin. Vêca ma ew piþtî Xuda û ayetên wî bi kîjan peyvê bawerî tînin?
7. 7Xulî li serî her derewkerê gunehkar be.
8. 8Ew ayetên Xuda ku li serê têne xwendin dibihîze, paþê bi quretî rik dike herwekî ku qe nebihîstibe; vêca tu wî bi ezabek bi jan mizgîn bike.
9. 9Ew gava tiþtekî ji ayetên me hîn dibe, wan bi tinaz digre. Ewên han ji wan re ezabekî riswaker heye.
10. 10Ji paþ wan ve dojeh heye. Ne tiþtê bi dest xistine tiþtekî bikêra wan tê û ne jî yar û yawerên ku bêyî Xuda girtin. Ji wan re ezabekî mezin heye.
11. 11Ev (Qur´an)a han rêber e. Ewên ku bi ayetê perwerdekarê xwe kafir bûne ji wan re ezabekî bi jan ji ezabê pîs heye.
12. 12Xuda ye ê ku deryayê ji we re ram kiriye ji bo ku keþtî bi fermana wî tê de biherike-bimeþe û ji bo ku hûn ji qenciya wî bixwazin û hêvî heye ku hûn sipas bikin.
13. 13Û ji (qenciya) xwe tiþtê di asîmana û tiþtê di zemîn de tev ji we re ram kiriye. Bêguman ji komelekî ku difikirin re di vî de gellek ayet (nîþan) hene.
14. 14Tu ji ewên bawerî anîne re bêje ku: "Bira ew li ewên ku hêviya rojê Xuda nakin biborin, ji bo ku ew, komelekî bi sedem tiþtê bi dest xistine celat bike.
15. 15Kî karekî qenc bike, vêca ew ji xwe re dike û kî xerabî jî bike, êdî ew ji xwe re dike; paþê hûnê her bal perwerdekarê xwe ve bêne vegerandin.
16. 16Sond be, me kitêbê û fêrbûnê û pêxemberiyê da zariyê Îsraîl û me ji tiþtê pak rozî da wan û me wan di ser cîhaniyan re girt.
17. 17Û me ji hemû karan daxuyaniyan da wan. Vêca ew, tenê ji piþtî ku zanîn ji wan re hat ji ber dexesiya nav wan bi hev ketin. Bêguman perwerdekarê te wê roja qiyametê di nava wan de di tiþtê ku ew tê de bi hev ketine de hukim bike.
18. 18Paþê me te ji kara li ser rêyek (dînek) çêkir; êdî tu bide pey wê û nede pey hewesê ên nizanin.
19. 19Bêguman ew, te bi tu tiþtî ji Xuda bêhewce nakin. Bêguman sitemkar jî hin ji wan dostê hina nin û Xuda jî yar û yawerê xweparêzan e.

20.20Ev (Qur´an)a han ji mirovan re çavvekirin û ji komelekî ji dil bawer dikin re rêber û dilovanî ye.
21.21Ma qey ewên ku xerabiyan bi dest xistine guman dikin ku emê wan bikin wekî ên bawerî anîne û karên qenc kirine?; emê jiyana wan û mirina wan wekî hev bikin? Tiþtê hukim dikin çi nerind e!
22.22Xuda, asîmana û zemîn bi rastiyê aferandiye û ji bo ku her kes bi tiþtê bi dest xistiye bête celat kirin û ew tadê jî nabînin.
23.23Vêca ma te dît ê ku hewesa xwe ji xwe re bi Xudayî girt û Xuda wî li ser zanînê ji rê þaþ kir û li ser gohê wî û dilê wî mohr kir û li ser çavê wî jî perde çêkir. Vêca ma piþtî Xuda wê kî wî bide ser rêya rast? Ma hûn hêjî nafikirin-þîret nagirin?
24.24Gotin ku: "Ji vê jiyana me ya dinê pêve tu tiþt nîne, em dimirin û dijîn. Ji dema mezin (guherîna þev û rojan) pêve me têk nabe." Tu zanîna wan bi vî nîne. Ew hey guman dikin.
25.25Û gava ayetên me bi xuyanî li ser wan tên xwendin, delîla wan tenê (ev e) ku dibêjin: "Eger hûn rastgo ne de ka bav û kalên me bînin."
26.26Tu bêje ku: "Xuda, we dide jiyandin paþê we dimirîne paþê wê we bal roja qiyametê ve ku tu dudilî tê nîne bicivîne, lê belê pirrî mirovan nizanin."
27.27Mulkê asîmana û zemîn ê Xuda ye. Roja danê qiyametê rabe, wê rojê xwediyê karê pûç û beredayî ziyan dikin.
28.28Tu (ehlê) her dînî çokþikandî dibînî. Her kom bal kitêba xwe ve têne gazî kirin. Îro hûn bi tiþtê we kiriye têne celat kirin.
29.29Evê han kitêba me ye ku bi rastiyê li ser we dipeyive. Lewra bêguman me, her tiþtê we dikir dinivisand.
30.30Vêca heçî ên bawerî anîne û karên qenc kirine êdî perwerdekarê wan, ewan dixe dilovaniya xwe de. Rizgariya xuya her eva haye.
31.31Û heçî ên kafir bûne, (ji wan re tê gotin ku:) "Vêca ma qey ayetên min li ser we nedihat xwendin, vêca we quretî kir û hûn bûn komelekî gunehkar."
32.32Û gava hate gotin ku: "Bêguman wada Xuda rast e û danê qiyametê tu dudilî tê nîne" we got ku: "Em nizanin danê qiyametê çî ye. Em hey guman dikin û em ji dil bawer nakin."
33.33Û xerabiya tiþtê kiribûn ji wan ve xuya bû û tiþtê pê tinaza dikirin hawîdorê wan girt.

34. 34Û hat gotin ku: "Emê jî îro we ji bîr bikin çewa ku we pergîhatina vê roja we ya han ji bîr kir û hewyegeha we agir e û ji we re tu alîkar jî nînin."
35. 35Evê han ji ber ku bi rastî we ayetê Xuda bi tinaz girt û jîna dînê we xapand. Êdî îro ew ne jê tên derxistin û ne jî veger ji wan tê xwestin.
36. 36Vêca pesn û sipas her ê Xudayê perwerdekarê asîmana û perwerdekarê zemîn, perwerdekarê hemû cîhana ye.
37. 37Meznahiya di asîmana û zemîn de her a wî ye. Serkeftiyê hîkmetdar her ew e.

## Chapter 46 (Sura 46)

1. 1Ha, Mîm
2. 2Daxistina kitêbê hin bi hin ji Xudayê serkeftiyê hîkmetdar e.
3. 3Me asîmana û zemîn û tiþtê di nava wan de her bi rastiyê û demek navdayî aferandiye. Ewên kafir bûne ew ji tiþtê (pê) hatine hiþyar kirinê rû liba dixin.
4. 4Tu bêje ku: "De binêrin tiþtê hûn bêyî Xuda dihebînin, ka nîþanî min bidin wan ji zemîn çi aferandiye? Yan ji wan re þirîkatî di asîmanan de heye? Eger hûn rastgo ne ka kitêbek berî vê (Qur´an) a han yan þopekî ji zanînê bînin!"
5. 5Ji kesê bêyî Xuda gazî ê ku heya roja qiyametê bersiva wî nade û ew ji gaziya wan jî bêhay in dike, rêþaþtir kî heye?
6. 6Û gava mirov bêne civandin ew (pûtên wan) ji wan re dibin neyar û ew bi hebandina wan jî dibin kafir.
7. 7Û gava ayetên me aþkera li ser wan têne xwendin, ên kafir bûne ji rastiyê re çi gava ji wan re tê dibêjin: "Evê han efsûneke aþîkar e."
8. 8Yan qey ew dibêjin ku: "Wî ji ber xwe ve derxistiye?" Tu bêje ku: "Eger min wê ji ber xwe ve derxistibe êdî (ezabê) ji Xuda ji min re bê tu tiþt di destê we de nîne (hûn nikarin min jê biparêzin). Ew bi tiþtê hûn tê noq dibin zanatir e. Ew bi danasiya di navbera min û we de bes e. Bexþendekarê dilovan her ew e."
9. 9Tu bêje ku: "Ez ji pêxemberan ê pêþîn nînim (ku hûn ew qas sosret dibînim) û ez nizanim wê bi min û we çi bête kirin. Ez tenê didim pey tiþtê bal min ve tê wehî kirin û ez tenê hiþyarkerek aþîkar im."

10.10Tu bêje ku: "Ka binêrin! eger ew (Qur´an) ji cem Xuda be û hûn pê kafir bibin û danasê ji zariyê Îsraîl li serê danasî bide, vêca ew bawerî bîne û hûn quretî bikin (kafir bibin êdî ji we rê þaþtir kî heye?)" Bêguman Xuda, komela sitemkaran nade ser rêya rast.
11.11Ewên kafir bêne ji ên bawerî anîne re gotin ku: "Eger ew (dîn) baþtir bûna ew pêþiya me nediketin." Wan çi gava pê rêya rast nedît vêca wê bêjin: "Eva han derewek kevnare ye."
12.12Berê wê kitêba Mûsa peþwa û dilovanî bû. Eva han jî kitêbek rastdêr e bi zimanê erebî ye ji bo ku ên sitemkarî kirine hiþyar bike-bitirsîne û ji qencîkaran re jî mizgîn e.
13.13Bêguman ên ku gotin: "Perwerdekarê me Xuda ye" paþê xwe rast kirin, êdî ne tirs li ser wan heye û ne jî ew xemgîn dibin.
14.14Ewên han ehlê bihiþtê ne, bergîdana tiþtê dikirin wê ew tê de hertimî bin.
15.15Me li mirova þîret kiriye ku bi dê û bavê xwe qencî bike. Diya wî bi zor wî hilgirtiye û bi zor wî daniye. Hilgirtina wî û (ji þîr) veqetina wî sî meh e. Heya gava gihîþt hêza xwe û gihîþt çihl saliyê, got ku: "Perwerdekarê min! tu hêz bide min ez sipasî qenciyê ku te bi min û dê û bavê min qencî kiriye bikim û ez karê baþ bikim ku tu pê qayil bibî û tu di nifþa min de ji min re baþî bike. Bêguman ez bal te ve poþmam bûmevegeriya me û bêguman ez ji musilmana me."
16.16Evên han in ên ku em rinditirê tiþtê kirine ji wan dipejirînin û em di nav ehlê bihiþtê de ji xerabiyên wan diborin. Wada rast e ku ew hatine wade dayîn.
17.17Ewê ku ji dê û bavê xwe re got: "Of ji we re, ma hûn min ditirsînin ku ezê (piþtî mirinê ji gorê) bême derxistin, tevî ku berî min gellek nifþ derbas bûne?" Ew (dê û bavê wî jî) hewarê li Xuda dadixin ku: "Xulî li serê te be! bawerî bîne. Lewra bêguman wada Xuda rast e." Vêca ew jî dibêje: "Evê han çîrokê peþiyan e."
18.18Evên han in ên ku gotina (ezabê) di nav komên ji cinn û mirovan ku berî wan derbas bûne de li ser wan pêwirt bûye. Bêguman ew bûne ziyankar.
19.19Ji hemûyan re ji tiþtê kirin hin paye (ji xelat û celatê) hene û ji bo ku (Xuda bergîdana) karên wan bêkêmasî bide wan û ew nayên tade kirin jî.

20.20Û roja ku ewên kafir bûne li ser agir têne derpêþ kirin (ji wan re tê gotin:) "We, xweþiyên xwe di jiyana dinê de derbas kir û we pê kêfa xwe kir. Îdî îro, hûnê bi sedem ku we di rûyê zemîn de bi neheqî quretî dikir û bi sedem ku hûn ji rastiyê derdiketin, bi ezabê riswatiyê bêne celat kirin."
21.21Û (Hûd) birayê (komela) Ad di bîr bîne, dema ku wî komela xwe li Ehqafê (Girên ji qûmê) tevî ku berî wî û piþtî wî gellek hiþyarker derbas bûn jî hiþyar kir ku: "Hûn ji Xuda pêve kesî nehebînin. Bêguman ez li ser we ji ezabê roja mezin ditirsim."
22.22Gotinê: "Ma tu hatî me bi derewa ji Xudayên me bizivrînî? Vêca eger tu bera ji rastgoyanî ka tu tiþtê me pê ditirsînî ji me re bîne."
23.23(Hûd) got ku: "Bêguman zanîn tenê li cem Xuda ye, û ez tiþtê pê hatime þandin bi we radigihînim, lê belê ez we komelekî nezan dibînim."
24.24Vêca çi gava wî (ezabî) dîtin ku ewrek e, ber bi newalên wan tê, gotin: "Evê han ewrek e wê baranê bide me." Ne, ew tiþtê we pê dilezande. Bayekî ku tê de ezabekî bi jan heye.
25.25Ewê bi fermana perwerdekarê xwe her tiþtî wêran bike. Vêca ew bûn ku ji ciyên wan pêve nedihat dîtin. Em komela sûcdakarên gunehkar wuha celat dikin.
26.26Sond be, me wan di hin ciyan de bi cîh kir ku me we tê de bi cîh nekiribû, û me ji wan re goh û çav û dilan çêkir. Lê ne gohên wan û ne çavên wan û ne jî dilên wan bi tu tiþtî bikêra wan hat; ji ber ku wan ayetê Xuda înkar dikir û tiþtê pê tinaz dikirin hawîdor li wan girt.
27.27Sond be, me gellek bajarên derûdora we têk bir û me ayetan daxuyand hêvî heye ku ew vegerin.
28.28Vêca ma çima ewên ku bêyî Xuda ji bo nêzikahiyê bi Xudayî digirtin yariya wan nekir. Ne, ew ji wan hinda bûn. Evê han derewa wan e û tiþtê ji ber xwe ve diavetin e.
29.29(Di bîr bîne) dema me komekî ji cinna bal te ve liba xist ku Qur´anê gohdarî dikirin. Vêca çi gava hatin balê gotin: "Deng nekin." Vêca çi gava (xwendin) qediya ew bi hiþyarkerî çûne bal komela xwe ve.
30.30Gotin: "Gelê me! bêguman me kitêbekî bihîst ku piþtî Mûsa hatiye daxistin, ew, ê berî xwe rast didêre, bal rastiyê ve û bal rêya rastîn ve rêberî dike."

31.31"Gelê me! hûn bersiva dozvanê Xuda bidin û pê bawerî bînin ku gunehê we ji we re bibexþîne û we ji ezabê bi jan rizgar bike."
32.32Kî bersiva dozvanê Xuda nede êdî ew di rûyê zemîn de bêzarker nîne, û ji wî pêve jê re tu yar û yawer jî nînin. Ewên han di þaþiyek xuya de ne.
33.33Ma qey ew nabînin ku bêguman Xudayê ku asîmana û zemîn aferandiye û ew bi aferandina wan newestiyaye, dikare ku miriyan jî vejîne? Çewa! bêguman ew bi her tiþtî dikare.
34.34Û roja ku wê ewên kafir bûne li ser agir bêne derpêþ kirin (wê ji wan re bê gotin ku:) "Ma evê han nerast e?" Wê bêjin: "Belê çewa! em bi perwerdekarê xwe kin (ev rast e)." (Xuda) got ku: "Nexwe hûn bi sedem ku kafir bûne ezab tam kin."
35.35Vêca tu bîhna fireh nîþan de çewa ku pêxemberên xwediyê hewiyê bîhna fireh nîþan dan, û tu ji wan re nelezîne. Ew, roja ku tiþtê têne wade dayîn dibînin, ew herwekî ku ji danekî rojê pêve (li dinê) nemabin. (Ev Qur´ana han) ragihandin e-qîm dike. Vêca ma qey ji komela ji rastiyê derketî pêve têk tê birin?

## Chapter 47 (Sura 47)

1. 1Ewên ku kafir bûne û (mirovan) ji rêya Xuda girtine (nahêlin bawerî bînin, Xuda) kirinên wan pûç kiriye.
2. 2Ewên bawerî anîne û karên qenc kirine û bi tiþtê li ser Muhammed hatiye daxistin bawerî anîne-tevî ku ew ji perwerdekarê wan rastî ye, (Xuda) nepakiyên wan ji wan biriye-bexiþandiye û rewþa wan baþ kiriye.
3. 3Evê han ji ber ku bêguman ewên kafir bûne dane pey pûçîtî û beredayîtiyê û bêguman ên ku bawerî anîne jî dane pey rastiya ji perwerdekarê xwe. Xuda ji mirovan re wuha mînakan dide.
4. 4Vêca gava hûn (di cengê de) rastî ên kafir bûne hatin êdî hûn li sitûyê wan din (wan bikujin); heya gava we zora wan bir (wana bi pirranî kuþt û dîl girt) êdî hûn girêkan biþidînin (ku ji destê we nefilitin) heya gava cengê çekên xwe danî (hûn bi ser ketin û ew zebûn bûn) êdî piþtre ya bi qencîtî yan jî bi girtina bergîdanekî (hûn dîlan berdin. Kar) evê han e. Eger Xuda bixwesta wê bi xwe heyf ji wan hilanîna. Lê belê (wuha nake) ji bo ku hina ji we bi

hina sihêtî bike. Ewên ku di rêya Xuda de hatine kuþtin, êdî (Xuda) kirinên wan hinda nake.

5. 5Wê (Xuda) wan rêberî bike û rewþa wan xweþ bike.
6. 6Û wê wan têxe bihiþta ku ji wan re salix daye-xweþ kiriye.
7. 7Gelî ên bawerî anîne! eger hûn yariya Xuda bikin wê ew jî yariya we bike û piyên we paydar bike.
8. 8Ewên kafir bûne jî êdî þemitandin-sernûgînî ji wan re be û (Xuda) kirinên wan jî pûç û beredayî derxistiye.
9. 9Evê han bi sedem ku bêguman ew bi tiþtê Xuda daxistiye dilnexweþ bûn, vêca wî kirinên wan þewitandiye.
10. 10Vêca ma qey ew li rûyê zemîn negeriyan ku bibînin ka paþiya ên berî wan çewa bû? Xuda, (warên wan) bi ser wan de wêran kir û ji kafiran re jî wekî wî heye.
11. 11Evê han ji ber ku bêguman Xuda yar û yawerê ên bawerî anîne ye û bêguman kafir, ji wan re tu yar û yawer nînin.
12. 12Bêguman Xuda, ên bawerî anîne û karên qenc kirine dixe bihiþtên ku çem ji binê wan diherikin. Ewên kafir bûne kêfa xwe dikin û çewa dewar dixwin ew dixwin û agir ji wan re qonax e.
13. 13Çiqas bajar ku ew ji bajarê te yê te deranîn bihêztir bûn jî me wan têk bir, êdî tu alîkar ji wan re nînin.
14. 14Vêca ma ê ku li ser daxuyaniyek ji perwerdekarê xwe be wekî wî ye ku karê wî yê xerab jêre hatiye xemilandin? Wan daye pey dilxwaziyên xwe.
15. 15Mînaka bihiþta ku ji xweparêzan re hatiye wade dayîn; têde çemên ji ava ne genî û çemên ji þîrê ku tama wî neguheriye û çemên ji meyxwiran re xweþ e û çemên ji hingivê dakirî heye; û ji wan re tê de ji her fêkiyî û bexþînek ji perwerdekarê wan heye. (Ma ê ku di nav van xweþiyan de ye) wekî ê ku hertimî di agir de ye? Ew ji avekî kelandî hatin avdan, vêca rodiyên wan perçe kir.
16. 16Hin ji wan li te gohdarî dikin, heya gava ku ji cem te dertên, ji ewên zanîn ji wan re hatiye dayîn re dibêjin: "Ma wî hêja çi got?" Ewên han in ên ku Xuda ser dilên wan mohr kiriye û wan daye pey dilxwaziyên xwe.
17. 17Ewên ku rêya rast dîtine (Xuda) rastiya wan pirrtir kiriye û xweparêziya wan daye wan.

18.18Vêca ma ew hey li hêviya danê qiyametê ne ku ji niþkavde bê wan? Vêca bi rastî nîþanên wê hatine. Gava bête wan, êdî þîret girtina wan çi bikêra wan tê?
19.19Êdî tu bizanbe ku: Bêguman ew, ji wî pêve tu Xuda nînin û tu ji gunehê xwe û ji mêrên bawermend û jinên bawermend re bexþînê bixwaze. Xuda ciyê çûn û hatina we (bi roj) û ciyê qonaxa we (bi þev) dizane.
20.20Ewên bawerî anîne dibêjin ku: "Ma çima sûretek nehatiye daxistin." Vêca gava sûretek biryardayî bê daxistin û tê de behsa cengê bibe, tu ewên di dilên wan de nexweþîn heye dibînî ku ew wek nêrîna ê ji tirsa mirinê bêhiþ ketiye li te dinêrin. Vêca ew ji wan re çêtir e!
21.21Peyrewtî û gotina xweþ (hê çêtir e). Vêca gava kar (ê cengê) beratî-ji dil bibe, (ew xwe ji pare didin). Vêca eger ew bi Xuda re rast bûna ewê ji wan re baþtir bûna.
22.22Vêca ma nabe ku eger hûn (ji rastiyê) rû bizivrînin, hûnê di rûyê zemîn de xerabkarî bikin û hûnê merivatiya xwe bibirrin?
23.23Evên han in ên ku Xuda li wan lanet kiriye vêca wan kerr kiriye û çavên wan kor kiriye.
24.24Vêca ma qey ew li Qur´anê hûr nafikirin? Yan li ser dilan qeflên wan hene?
25.25Bêguman ên ku piþtî rêya rast ji wan re xuya bû, li ser paþiyên xwe zivirîn (kafir bûn) ew pelîd ji wan re xemilandiye û arzûyên dirêj ber wan xistiye.
26.26Evê han ji ber ku wan ji ên ku bi tiþtê Xuda daxistiye dilnexweþ bûn re gotin ku: "Emê di hin karan de peyrewtiya we bikin." Xuda, veþariyên wan dizane.
27.27Vêca gava feriþte canê wan bistînin çewa ne ku ew li rûyên xwe û paþiyên xwe dixin?
28.28Evê han ji ber ku bi rastî wan da pey tiþtê Xuda hêrs dike û ji qayilbûna wî hiz nekirin, vêca wî kirinên wan þewitand.
29.29Ma ewên di dilên wan de nexweþîn heye guman dikin ku wê Xuda kîn û neyartiya wan qet dernexe?
30.30Eger me bixwesta, me yê wan nîþanî te bidana vêca te yê wan bi sikûmê wan nas bikirna. Sond be tê wan di nav gotinê wan de binasî. Xuda kirinên wan dizane.

31. 31Sond be emê we sihêtî bikin heya ku em cîhadvan û bîhnfirehên ji we bizanbin û em bûyerên we jî sihêtî bikin.
32. 32Bêguman ên kafir bûne û pêþî li rêya Xuda girtine û piþtî ku rêya rast ji wan re xuya bû neyartiya pêxember kirine, ew nikarin bi tu tiþtî ziyanê bidin Xuda. Wê kirinên wan biþewitîne.
33. 33Gelî ên bawerî anîne! hûn bidin pey Xuda û bidin pey pêxember û kirinên xwe pûç û beredayî dernexin.
34. 34Bêguman ên kafir bûne û pêþî li rêya Xuda girtine paþê ew tevî ku kafir bûn mirine, êdî Xuda qet ji wan re nabexþîne.
35. 35Vêca hûn xwe sist û zebûn nekin û bal aþtiyê ve gazî nekin, tevî ku hûn serdesttir in. Xuda bi we re ye û qet kirinên we ji we re kêm nake.
36. 36Bêguman jîna dinê her leystik û hewes in. Eger hûn bawerî bînin û xwe biparêzin, wê destmuzên we bide û malên we jî ji we nexwaze.
37. 37Eger ew wî ji we bixwaze vêca li we zor bê hûnê timatî nîþan din, ewê jî kîn û neyartiyên we derîne.
38. 38Ha hûn evên han, hûn tên gazî kirin ji bo hûn di reya Xuda de bidin, vêca hin ji we timatî nîþan didin. Kî timatî bike êdî bêguman ew her ji xwe re dike. Xuda, dewlemend e-bêhewce ye û hûn xizan in-hewcedar in. Eger hûn rû bizivrînin, wê we bi komelekî din biguherîne, paþê ew nabin mîna we.

## Chapter 48 (Sura 48)

1. 1Bêguman me pîrozîkî xuya ji te re vekiriye.
2. 2Ji bo ku Xuda gunehê te yê borî û ê para de bibexþîne û qenciya xwe li ser te pêk bîne û te bigihîne rêya rastîn.
3. 3Û Xuda bi yariyek serkeftinî yariya te bike.
4. 4Ew e ê ku di dilê bawermendan de hêminî daxistiye ji bo ku bi baweriya xwe re bawerî pirr kin. Leþkerê asîmana û zemîn ê Xuda ne. Xuda hey zanayê hîkmetdar e.
5. 5Ji bo ku (Xuda) mêrên bawermend têxe bihiþtên ku ji binê wan çem diherikin, ewê hertimî tê de bimînin û nepakiyên wan ji wan bibe. Evê han li cem Xuda hey rizgariyek mezin e.

6. 6Û mêrên durû û jinên durû û mêrên pûtperest û jinên pûtperest ên ku bi gumanek pîs bi Xuda bedguman in jî bide ezabê Çerxa xerab li ser wan e. Xuda li wan hêrs bûye û li wan lanet kiriye û ji wan re dojehê amade kiriye. Çi þûnvegerek nerind e!
7. 7Leþkerê asîmana û zemîn ê Xuda ne. Xuda hey serkeftiyê hîkmetdar e.
8. 8Bêguman me te danas û mizgînvan û hiþyarker þandiye.
9. 9Ji bo ku hûn bi Xuda û pêxemberê wî bawerî bînin û wî yarî bikin-biparêzin û birûmet mezin bigrin û sibe û êvara wî pak bêrî bidêrin.
10. 10Bêguman ên ku bi te re bey´et (hevpeymanî) kirine wan her bi Xuda re bey´et kiriye. Destê Xuda li ser destê wan e. Vêca kî (peymana xwe) biþkîne, êdî ew li xwe diþkîne. Kî jî tiþtê li serê bi Xuda re hevpeymanî çêkiriye pêk bîne edî wê xelatekî mezin bide wan.
11. 11Ji erebê çolê ên ku (ji cengê) para de hatine hiþtin wê ji te re bêjin ku: "Malên me û ehlê me, me mijûl kir, vêca tu ji me re bexþîne bixwaze." Ew tiþtê di dilên wan de nîne bi zimanên xwe dibêjin. Tu bêje ku: "Eger Xuda ziyana we bixwaze yan kara we bixwaze, vêca li hember wî di destê kî de tiþtek heye ku nehêle?" Ne, (tu kes nikare tiþtekî bike). Xuda bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.
12. 12Ne, we guman dikir ku tu car wê pêxember û bawermend bal ehlê xwe ve qet venegerin. Evê han di dilên we de xweþ hat û we bi gumanek pîs bedgumanî kir û hûn bûn komelekî têkçûyî.
13. 13Kî bi Xuda û pêxemberê wî bawerî neyne, vêca bêguman me ji kafiran re agirek har amade kiriye.
14. 14Mulkê asîmana û zemîn ê Xuda ye, ew kî bixwaze dibexþîne û kî jî bixwaze dide ezabê. Xuda hey bexþendekar e dilovan e.
15. 15Gava hûn derên bal xenîmetê ve herin ji bo ku hûn wan bigrin ên (ji cengê) para de hatine hiþtin dibêjin ku: "Hûn me bihêlin em jî bidin pey we." Ew dixwazin ku peyva Xuda biguherînin. Tu bêje ku: "Hûn qet nadin pey me. Evê han Xuda ji berê ve gotiye." Vêca wê bêjin ku: "Ne, hûn ji me çavnebariya dikin." Ne, ew ji hindikî pêve tê nagihên .
16. 16Tu ji erebê çolê ên ku para de hatine hiþtin re bêje ku: "Hûnê bal komelekî zor cengvan ve bêne gazî kirin ku hûn bi wan re þer bikin yan jî ew serî deynin-musilman bibin, vêca eger hûn peyrewtî bikin wê Xuda xelatek

rind bide we. Eger çewa ku we berê piþt dayê hûn piþt bidinê wê we bi ezabekî bi jan bide ezab dayîn."

17.17Ne li ser ê kor zorîtî heye û ne li ser ê qot (seqet) zorîtî heye û ne jî li ser ê nexweþ zorîtî heye. Kî peyrewtiya Xuda û pêxemberê wî bike, wê (Xuda) wî têxe bihiþtên ku çem ji binê wan diherikin. Kî jî piþt bidê, wê wî bi ezabekî bi jan bide ezab dayîn.

18.18Sond be Xuda ji bawermendan dema li binê darê bi te re bey´et kirin qayil bû; vêca tiþtê di dilên wan de zanî, êdî hêminiyê bi ser wan de daxist û pîrozîkî nêz mizgîn da wan.

19.19Û gellek xenîmetê ku wê bigrin. Xuda hey serkeftiyê hîkmetdar e.

20.20Xuda, gellek xenîmet bi we wade daye ku hûnê wan bigrin. Vêca eva han ji we re zû kiriye û destê mirovan ji we girtiye; ji bo ku ji bawermendan re bibe nîþan (a pîroziyê) û we bide ser rêya rastîn.

21.21Û (gellek xenîmet)ên din jî ku hê we nikariya bi ser wan kevin. Bi rastî Xuda hawidor li wan girtiye-wan ji we re parastiye. Xuda hey bi her tiþtî dikare.

22.22Eger ên kafir bûne bi we re þer bikirna wê wan piþt bidayê, paþê ne yar û yawer û ne jî alîkar didîtin.

23.23Rê û rêça Xuda ye ku ji berê de derbas bûye. Tu ji rê û rêça Xuda re tu guherîn qet nabînî.

24.24Ew e ê ku di nava Mekkê de piþtî we li ser wan pîroz kir destên wan ji we girt û destên we jî ji wan girt. Xuda tiþtê hûn dikin hey dibîne.

25.25Ew in ên kafir bûne û we ji Mizgevta Heremê û goriya ku diviya bigihîþta ciyê xwe, para xiþtin. Eger ne ji ber hin zilamên bawermend û pîrekên bawermend ku hê hûn wan nizanin-nas nakin, hûnê pêl wan bikin vêca wê bi nezanî gunehek (yan ziyanek) ji wan bigihê we, bûna (minê we îsal bixista Mekkê. Lê me wuha kir) ji bo ku Xuda ê dixwaze têxe dilovaniya xwe de. Eger ew ji hev cihê bibûna, me yê ên ji wan kafir bûne, bi ezabekî bi jan bida ezab dayîn.

26.26Dema ên kafir bûne xîret-kêþî xîreykêþiya dewra nezaniyê kirin dilên xwe de, vêca Xuda, hêminiya xwe bi ser pêxemberê xwe û bi ser bawermendan de daxist û peyva xweparêziyê li ser wan pêwist kir ku ew pê hêjatir û ehlê wê bûn. Xuda hey bi her tiþtî zana ye.

27. 27Sond be, Xuda xewna pêxemberê xwe bi duristî rast derxist ku hûnê -eger Xuda bixwaze-biewletî ser kurkirî û porqusandî têkevin Mizgevta Heremê, hûn natirsin jî. Vêca wî tiþtê we nezanî zanî, êdî berî vî pîroziyek nêz çêkir.
28. 28Ew e ê ku pêxemberê xwe bi rêberî û dîne rastiyê þand ji bo ku wî bi ser her dînî bixe. Xuda bi danasî bes e.
29. 29Muhammed pêxemberê Xuda ye, ên digel wî li ser kafiran zor dijwar in û di nava xwe de jî dilovan in. Tu wan dibînî ku xor dibin û serî datînin ji Xuda qencî û qayilbûnê dixwazin. Nîþana wan di rûyên wan de ji dewsa serîdanînê ye. Minaka wan di Incîlê de jî: wekî çandiniya ku zîla xwe derxistiye vêca wê rastzexm kiriye, vêca ew qalind bûye, êdî ew li ser koka xwe rast bilind bûye ku cotkaran dixe sosretê, ji bo ku kafiran bi wan hêrs bike. Xuda bi ên ji wan ku bawerî anîne û karên qenc kirine bexþîn û xelatek mezin wade daye.

## Chapter 49 (Sura 49)

1. 1Gelî ên bawerî anîne! hûn pêþiya Xuda û pexemberê wî nekevin û hûn xwe ji Xuda biparêzin-bitirsin. Bêguman Xuda sehkirê zana ye.
2. 2Gelî ên bawerî anîne! hûn dengê xwe bi ser dengê pêxember de bilind nekin û hûn çewa bi hev re bi deng mijûl dibin pê re bi deng mijûl nebin ku bêyî haya we jê hebe kirinên we biþewite.
3. 3Bêguman ên ku dengê xwe li cem pêxemberê Xuda kêm dikin, ewên han in ên ku Xuda dilên wan ji xweparêziyê re sihêtî kiriye; ji wan re bexþîn û xelatek mezin heye.
4. 4Bêguman ewên ku ji piþt xaniyan ve gazî te dikin pirrî wan hiþ tê nabin-xwe ranagirin.
5. 5Bêguman eger wan hewî bikirna heya ku tu derdiketî ba wan wê ji wan re çêtir bûna. Xuda bexþendekarê dilovan e.
6. 6Gelî ên bawerî anîne! eger yekî fasiq (ji rêya rast derketî) ji we re xeberekî anî, vêca hûn baþ lê bikolin ji bo ku hûn bi nezanî belakî bi serê komelekî de neynin, vêca hûnê poþman bibin.

7. 7Hûn baþ bizanbin ku pêxemberê Xuda di nava we de ye. Eger wî di pirrî karan de peyrewtiya we bikirna hûnê biketina tengasiyan de. Lê bele Xuda baweriyê bi we xweþ kiriye û wê di dilên we de xemilandiye û kufrê û fisqê (derketina ji rêya rast) û bêfermaniyê bi we nexweþ kiriye. Ên rêya rast dîtine her evên han in.
8. 8Rûmet û qenciyek ji Xuda ye. Xuda zanatê hîkmetdar e.
9. 9Eger ji bawermendan du desta li hev xist-þer kirin, êdî hûn di naca wan de aþtî bikin. Vêca eger yekî ji wan li a din tadê kir êdî hûn bi (dest) a ku tadê dike re þer bikin heya ku ew bal fermana Xuda ve vedigere. Vêca eger vegeriya êdî hûn bi dadî (edaletê) di nava wan de aþtî bikin û bi rastiyê tevbigerin. Bêguman Xuda ji ehlê dad û rastiyê hiz dike.
10. 10Bêguman bewermend her biran e, vêca hûn di nava birayên xwe de aþtî bikin û xwe ji Xuda biparêzîn hêvi heye ku hûn bêne dilovanî kirin.
11. 11Gelî ên bawerî anîne! bira zilam bi zilama tinaza nekin dibe ku ew ji wan çêtir bin; û bira pîrek jî bi pîreka (tinaza nekin) dibe ku ew ji wan çêtir bin. Hûn hev û din þermezar nekin û bi navê nexweþ gazî hev nekin. piþtî baweriyê navê nexweþ bi hev ve danîn çi pîs e. Kî poþman nebevenegere, edî sitemkar her ewên han in.
12. 12Gelî ên bawerî anîne! hûn xwe ji pirr bedgumaniyê dûr bikin. Lewra bêguman hinek bedgumanî guneh in. Hûn li pey hev û din gotina negerin casûsî û sixûriya nekin û paþpenî hev û din nepeyivin. Ma yek ji we hiz dike ku goþtê birayê xwe bi mirîtî bixwe?; tevî ku hûn jê bîzê xwe tînin. Hûn xwe ji Xuda biparêzin-bitirsin. Bêguman Xuda poþmaniya dipejirîne dilovan e.
13. 13Gelî morivan! bêguman me we ji zilam û pîrekî aferandiye û me ji bo ku hûn hevûdin nas bikin we kiriye gel û êl. Bêguman li cem Xuda baþtirê we xweparêztirê we ye. Bêguman Xuda zana ye haydar e.
14. 14Erebê çolê gotin ku: "Me bawerî aniye." Tu bêje ku: "We bawerî neaniye lê belê bêjin: "Em musilman bûne." Hê bawerî neketiye dilên we. Eger hûn peyrewtiye Xuda û pêxemberê wî bikin, tu tiþt ji kirinên we kêm nake. Bêguman Xuda bexþendekarê dilovan e.
15. 15Bêguman bawermend tenê ew in ku bi Xuda û pêxemberê wî bawerî anîne paþê neketine dudiliyê û bi malên xwe û canên xwe di rêya Xuda de cîhadê kirine. Rastgo her evên han in.

16. 16Tu bêje ku: "Ma hûn Xuda bi dînên xwe haydar dikin? Tevî ku Xuda bi tiþtê di asîmana û tiþtê di zemîn de dizane. Xuda zanayê bi her toþtî ye."
17. 17Ew musilmaniya xwe li ser te dikin qencî. Tu beje ku: "Hûn musilmantiya xwe qet li ser min nekin qencî. Ne, eger hûn bera rastgo ne, Xuda li ser we qencî kiriye ku we bal baweriyê ve rêberî kiriye."
18. 18Bêguman Xuda veþariyê asîmana û zemîn dizane. Xuda, tiþtê hûn dikin baþ dibîne.

## Chapter 50 (Sura 50)

1. 1Qaf. Bi Qur´ana bilind hêja (ewê ji gora bêne rakirin).
2. 2Ne, ew ku ji wan re hiþyarkerek ji wan hatiye, sosret man, loma kafiran got ku: "Evê han tiþtekî pirr sosret e."
3. 3"Ma gava em bimrin û bibin xulî (emê dîsa rabin?) Evê han vegerek pirr dûr e."
4. 4Bi rastî, tiþtê zemîn ji wan kêm dike me zaniye. Li cem me kitêbek parêzwan heye.
5. 5Ne, çi gava rastî ji wan re hat wan derewand. Êdî ew di karekî tevlîhev de ne.
6. 6Vêca ma qey ew li asîmanê seriya xwe nanêrin ku me wî çewa ava kiriye û me wî xemilandiye û jê re tu qelþ jî nînin.
7. 7Û me zemîn jî (çewa) dirêj raxistiye?; û me çiyayên bêhej tê de daniye û me tê de ji her cotê rind (giya) hêþîn kiriye.
8. 8Ji her bendeyê ji dil vedigere re çavvekirinî û bîrxistin e.
9. 9Me ji asîman avekî pirr bixweþî daxit, vêca me pê gellek bax û baxçe û tenê çinandinê hêþîn kir.
10. 10Û darê xurma yên dirêj ku bûtikên wan li ser hev hûnandî ne jî (me pê hêþîn kir).
11. 11Ji bo rozîniya bendeyan; û me pê welatekî mirî vejand. Derketina (ji goran) jî her wuha ye.
12. 12Berî wan komela Nûh û ehlê Ressê û Semûd jî derewandin.
13. 13Û (komela) Ad û Fîr2ewn û birayên Lût jî.

14. 14Û ehlê Eyketê (satara-daristanê gurr) komela Tubbe´ê jî. Teva jî pêxamberan derewandin; vêca ezabê min pêwist bû.
15. 15Vêca ma qey em ji aferandina pêþîn bêzar bûn (ku rakirina wan ji goran ji me re zor bê?) . Ne, (em bêzar nebûne lê) ew ji aferandinek nû di dudiliyê de ne.
16. 16Sond be, me mirov aferandiye û em dizanin ka di dilê xwe de çi çêdike. Em ji þahreha sitûyê wî pê nêziktir in.
17. 17Dema herdû (feriþte) ji rast û çep ve li hember rûnîþtî ne-çavnêrî dikin digrin û dinivsînin.
18. 18Gotina (mirov ji devê xwe) bipekîne her parêzvanek amade li balê ye.
19. 19Sikrata (bêhiþiya) mirinê bi rastî hat. A ku tu jê direviyayî eva haye.
20. 20Di sûrê de hat pif kirin. Roja ezab eva haye.
21. 21Û her kes ku pê re ajotvanek û danasek heye hat.
22. 22Sond be, haya te ji vî yê han nebû. Vêca me perda te ji (ser çavê) te rakir, êdî îro (dîtina) çavê te pirr tûj e.
23. 23(Feriþte yê) hevalê wî got ku: "Tiþtê li ba min amade ye evê han e."
24. 24(Xuda gote wan ku:) "Hûn her kafirê serkêþ bavêjin dojehê."
25. 25"Ewên ku qet nahêlin qencî bibe, ji hed derketî ne, dudil in."
26. 26"Ewê ku bi Xuda re Xudakî din jî çêkiriye. Vêca hûn wî bavêjin ezabê zor dijwar."
27. 27(Pelidê) hevalê wî got ku: "Perwerdekarê me! min bi xwe wî serkêþ nekiriye-ji rê dernexistiye, lê belê ew bi xwe ketþaþiyek dûr de."
28. 28(Xuda got ku:) "Hûn li cem min bi hev re xirecirê nekin. A rast min we berê bi ezab haydar kiribû."
29. 29"Ne gotin li cem min tê guhartin û ne jî ez li bendeyan sitemkar im."
30. 30Roja ku emê ji dojehê re bejin: "Ma tu tije bûyî?" Wê bêje ku: "Ma hê bêtir nînin?"
31. 31Bihiþt ji xweparêzan re hat nêzik kirin, ne dûr e.
32. 32Tiþta hûn têne wade dayîn eva haye; ji her bendewarê parêzvan re ye.
33. 33Kesê bi dizî ji (Xudayê) Mihrîban tirsiyaye û bi dilek vegerkar hatiye.
34. 34Hûn bi xweþî têkevinê. Roja hertimî mayînê eva haye.
35. 35Ji wan re tiþtê dilê wan bixwaze tê de heye û li cem me hê bêtir heye.

36. 36Me berî wan çiqas nifþa têkbiriye ku ew ji wana bi girtin zortir bûn, vêca ew li welata qul bi qul geriyan,lê ka ciyê revê (ji mirinê) heye.
37. 37Bêguman di vî de ji kesê dil jê re hebe yan guh bidê û ew amade be re þîret û bîrxistin heye.
38. 38Sond be, me asîmana û zemîn û tiþtê di nava wan de di þeþ rojan de aferandiye; û tu renc û westîn negihaye me.
39. 39Vêca tu li ser tiþtê ew dibêjin hewî bike û berî derketina rojê û berî çûna ava bi pesn û sipasê perwerdekarê xwe wî pak bêrî bidêre.
40. 40Û hin ji þevê û piþtî secdan jî ewî pak bêrî bidêre.
41. 41Tu guh bide roja ku wê bangvanekî ji ciyekî nêz gazî bike.
42. 42Roja ku wê qêrînê bi rastî bibihîzin. Roja derketin, eva haye.
43. 43Bêguman her em vedijînin û dimirînin; veger jî her bal me ve ye.
44. 44Roja ku wê zemîn ji wan biqeliþe, wê bilez û bez derên. Eva han civandinek hêsan e li ser me.
45. 45Em bi tiþtê ew dibêjin zanatir in û tu li ser wan ne zordarî. Vêca tu kesê ji ezabê min ditirse bi Qur´anê þîret bike-bi bîr xîne.

## Chapter 51 (Sura 51)

1. 1Bi (ba) yên ku bi gurrane ji hev belav dikin.
2. 2Vêca bi (ewr)ên barê giran hildigrin.
3. 3Vêca bi (keþti)yên ku bi hêsanî diherikin.
4. 4Êdî bi (feriþte) yên kara parve dikin.
5. 5Bêguman tiþtê hûn têne wade dayîn her rast e.
6. 6Û bêguman xelat û celat wê her çê bibe.
7. 7Bi asîmanê xwedî re (û sitêrk û avahiyê) rind kim.
8. 8Bêguman hûn her di gotinê tevlîhev de ne.
9. 9Ê jê (ji baweriyê) hatiye liba xistin tê liba xistin.
10. 10Ewên pir derewkar bêne kuþtin!
11. 11Ewên ku di korî û nezaniyê de bêhay in.
12. 12Dipirsin ku: Roja xelat û celatê kîngê ye?
13. 13Roja ku ew li ser agir têne þewitandin.

14.14(Ji wan re tê gotin ku:) "Hûn þewata xwe tam kin" Evê hane tiþtê ku we pê dilezand.
15.15Bêguman xweparêz di bax û baxçe û kaniyan de ne.
16.16Tiþtê perwerdekarê wan daye wan digrin. Lewra bêguman ew berî vî qencîkar bûn.
17.17Ew ji þevê hindik radizan.
18.18Û serê sibeha ew bexþînê dixwazin.
19.19Û di malê wan de ji gerok û bêparan re mafek heye.
20.20Ji ên bidilbawer re di zemîn de gellek ayet (nîþan) hene.
21.21Di we bi xwe de jî hene. Ma hêjî hûn nabînin?
22.22Roziya we û tiþtê hûn têne wade dayîn di asîmana de ye.
23.23Vêca bi perwerdekarê asîmana û zemîn kim, ew her rast e çewa ku hûn dipeyivin.
24.24Ma bera qiseta mêvanên Îbrahîm ên hêja ji te re hat?
25.25Gava hatin balê, vêca gotin: "Silav (li te be)." (Îbrahîm jî) got: "Silav (li we be. Hûn) komekî nenas in."
26.26Vêca bi dizî vegeriya bal maliyê xwe û golikî xurt (ê qelandî) anî.
27.27Vêca wî nêzî wan kir, got: "Ma hûn naxwin?"
28.28Vêca di dilê xwe de ji wan tirsiya, gotinê: "Tu netirse" û mizgîna zarûkî zana danê.
29.29Vêca pîreka wî qêrîn kir û li rûyê xwe da û got: "Pîrejinek sitewr (wê zarû bîne?)"
30.30Gotin: "Perwerdekarê te wuha gotiye. Bêguman ew, hîkmetdarê zana her ew e."
31.31(Îbrahîm) got ku: "Vêca xwestina we çiye gelî qasidan?"
32.32Gotin: "Bêguman em bal komelekî gunehkar ve hatine þandin."
33.33"Ji bo ku em kevirê ji heriyê bi ser wan de biþînin."
34.34"Ew (kevir) li cem perwerdekarê te ji hedderketiyan re nîþankirî ne."
35.35Vêca me bawermendên tê de deranî.
36.36Vêca me tê de ji malekî musilmanan pêve peyda nekir.
37.37Me tê de ji ên ku ji ezabê bi jan ditirsin re ayetek (nîþanek) hiþt.
38.38Di Mûsa de jî dema me wî bi delîlekî xuya þand bal Fîr´ewn (nîþanek heye).

39.39Vêca wî bi hevalên xwe re rû liba xist û got ku: "Yan efsûnger e yan jî din e."
40.40Vêca me wî û leþkerê wî girt, êdî me wan avêt deryayê û ewî bi gunehkarî li xwe loma dikir.
41.41Û di (komela) Ad de jî, dema me bayekî kokbirr bi ser wan de þand (nîþanek heye).
42.42Her tiþtê bi ser de hat, wî nehiþt, wî kir wek giyayê hiþkê hûrbûyî.
43.43Di (komela) Semûd de jî, dema ji wan re hat gotin ku: "Hûn heya demekî bi xweþî bijîn."
44.44Vêca wan ji fermana perwerdekarê xwe serkêþî kir, êdî qêrînek bêhiþker wan girt û wan jî dinihart.
45.45Êdî wan nedikaribû rabin û n jî hatin yarî kirin.
46.46Û berê jî komela Nûh (me fetisand). Bêguman ew komelekî ji rêya rast derketî bûn.
47.47Me asîman bi desta (bihêz) ava kiriye û bêguman em wî hey fireh dikin.
48.48Me zemîn jî raxistiye. Vêca ên raxistine çi rind in!
49.49Me ji her tiþtî du cota aferandiye. Hêvî heye ku hûn bifikirin-þîret bigrin.
50.50Vêca hûn her bal Xuda ve birevin. Bêguman ez, ji we re jê hiþyarkerekî xuya me.
51.51Hûn bi Xuda re Xudakî din çê nekin. Bêguman ez, ji we re jê hiþyarkerekî xuya me.
52.52Her pêxemberê ji ên berî wan re jî ku dihat her wuha digotin ku: "Yan, efsûnger e yan jî dîn e."
53.53Ma qey wan pê li hev û din þîret kiriye? Ne, ew komelekî serkêþ in.
54.54Vêca tu ji wan rû bizivrîne. Êdî tu nayê lome kirin.
55.55Û tu bi bîr xîne. Vêca bêguman bîrxistin bi kêra bawermendan tê.
56.56Min cinn û mirova hey ji bo min bihebînin aferandiye.
57.57Ez, ne tu rozî ji wan dixwazim û ne jî dixwazim ku ew xwarin bidin min.
58.58Lewra bêguman Xuda, rozîdanê xwediyê hêza zexm her ew e.
59.59Vêca bêguman ji ên sitemkarî kirine re hin guneh wekî gunehê hevalên wan hene; êdî bira ew nelezînin.
60.60Vêca xulî li serê ên kafir bûne be, ji roja wan ê ku têne wade dayîn.

## Chapter 52 (Sura 52)

1. 1Bi çiyayê Tûrê
2. 2Û kitêba rêz bi rêz nivsandî.
3. 3Di pelê raxistî de.
4. 4Û mala avakirî.
5. 5Û banê bilindkirî.
6. 6Û deryaya bi agir tijîkirî.
7. 7Bêguman ezabê perwerdekarê te wê hey were.
8. 8Tu kes nikare nehêle.
9. 9Roja ku asîman bi hejek zor dizivire.
10. 10Û çiya bi meþek dijwar diçe.
11. 11Edî wêrojê xulî li serê ên diderewînin be.
12. 12Ewên ku di (qeþmeriyan) de noq bûne dileyizin.
13. 13Roja ku bal agirê dojehê ve bi zorê têne qewirandin.
14. 14(Ji wan re tê gotin ku:) "Agirê ku we wî diderewand evê haye."
15. 15Vêca ma evê han efsûn e yan hûn nabînin?"
16. 16"Hûn têkevinê-biþewitin. Êdî we divê hewî bînin yan hewî neynin, ji we re yek e. Lewra bêguman hûn tenê bi tiþtê we dikir têne celat kirin."
17. 17Bêguman xweparêz di bihiþt û xweþiyan de ne.
18. 18Ew bi tiþtê perwerdekarê wan daye wan dilþa ne. Perwerdekarê wan, wan ji ezabê dojehê parastiye.
19. 19(Ji wan re tê gotin ku:) "Hûn ji ber tiþtê we kiriye di noþîcanî bixwin û vexwin."
20. 20Ew li ser textê rêz bi rêz kirî paldayî ne. Me wan bi horiyê çavbelek re kiriye cot-zewicandiye.
21. 21Ewên bawerî anîne û nivþa wan bi bawerî dane pey wan, me nivþa wan bi wan gihandiye. Me tu tiþt ji kirinê wan ji wan re kên nekiriye. Her kes bi keda xwe gerew e.
22. 22Û me, ji tiþtê dilê wan diçê pirr fêkî û goþt da wan.
23. 23Ew tê de kasikê meyê dirêjî hevûdin dikin ku tê de ne serxweþî heye û ne jî guneh.

24.24Ji wan re hin zarû (xulam) hene ku li ber (destê) wan digerin, ew her wekî moriyê parastî ne.
25.25Hin ji wan li hina zivirîn ji hevdû pirsîn.
26.26Gotin ku: "Bêguman em berê di nav maliyên xwe de dilbitirs-dilovîn bûn."
27.27"Vêca Xuda bi me qencî kir û me ji ezabê dojehê parast."
28.28"Bêguman me berê jî wî diheband. Bêguman ew, qencê dilovan her ew e."
29.29Vêca tu bi bîr xinê-þîreta bike; êdî tu bi qenciya perwerdekarê xwe ne penhango yî û ne jî dîn î.
30.30Yan qey ew dibêjin ku: "Ew þair e (helbestvan e). Em li bendê ne êþa mirinê pê de were."
31.31Tu bêje ku: "Hûn li bendê bin. Vêca bêguman ez jî bi we re ji bendewaran im."
32.32Yan qey hiþê wan ên çewt bi vî fermana wan dike yan ew komelekî serkêþ in?
33.33Yan ew dibêjin ku; "Wî (Qur´anê) ji ber xwe ve gotiye?" Ne, ew bawerî nayinin.
34.34Eger ew bera rastgo ne vêca ka bira ew peyvekî wekî wê bînin.
35.35Yan ew, ne ji tiþtekî hatine aferandinê yan ew bi xwe aferandekar in?
36.36Yan qey wan asîmana û zemîn aferandiye? Ne, ew ji dil pê bawerî nayinin.
37.37Yan qey xezîne perwerdekarê te li cem wan in? Yan ew xwedanê serdest in?
38.38Yan qey ji wan re pêplûk hene ku pê (bilind dibin) gohdarî dikin? Vêca bira gohdarê wan delîlek xuya bîne.
39.39Yan qey jê re keç û ji we re kur hene?
40.40Yan qey tu destmuzekî ji wan dixwazî, vêca ku ew ji deyndariyê bargiran bûne?
41.41Yan qey (zanîna) penhanî li cem wan e vêca ew dinivsînin?
42.42Yan ew dixwazin xax û dafekî bikin? Vêca ên kafir bûne her ew bi xax û daf in.
43.43Yan qey ji wan re bêyî Xuda Xudakî (dim) heye? Xuda ji tiþtê ew dikin þirîk pak bêrî ye.

44.44Eger ew bibînin ku ji asîman perçekî dikeve wê bêjin ku: "Ew ewrekî li ser hev dewisandî ye."
45.45Vêca tu dev ji wan berde heya ew rastî roja xwe ya ku ew tê de behîþ bikevin-bimirin, tên.
46.46Roja ku ne xax û dafê wan bi tiþtî bikêra wan tê û ne jî ew têne yarî kirin.
47.47Û bêguman ji ên sitemkarî kirine re berî vê (rojê) ezabek heye lê belê pirrî wan nizanin.
48.48Tu ji hukmê perwerdekarê xwe re hewî bike. Êdî bêguman tu li ber çavê me yî, û tu dema rabû yî bi pesn û sipasê perwerdekarê xwe wî (ji her kêmasiyî) pak bêrî bidêre.
49.49Û hinek ji þevê û piþtî çûna sitêrkan wî pak bêrî bidêre-limej ke.

## Chapter 53 (Sura 53)

1. 1Bi sitêrka (Perwînê) dema hinda dibe.
2. 2Hevalê we (pêxember) ne ji rêya rast þaþ bûye û ne jî þiqitiye.
3. 3Ew ji hewesa jî napeyive.
4. 4Ew (Qur´an) her wehyek e ku tê wehî kirin.
5. 5(Cebraîl) ê zor bi hêz pê daye hîn kirin.
6. 6Ku xwediyê hêzek rind e. Vêca rast bû.
7. 7Ew jî li asoyê jorîn bû.
8. 8Paþê nêz bû, vêca xwe berda jêr.
9. 9Vêca bû biqasî du kevana yan hê nêztir.
10. 10Vêca tiþtê bal bendeyê wî ve wehî kir, wehî kir.
11. 11Dil, tiþtê dît derew nekir.
12. 12Vêca ma hûn hêjî li ser tiþtê dîtiye pê re xirecirê dikin?
13. 13Sond be wî carekî din jî dît.
14. 14Li nik dara paþîn (Sîdretul munteha).
15. 15Bihiþta hewyegehê li balê ye.
16. 16Dema darê tiþtê rapeçand, rapêçand.
17. 17Çav ne çewt çû û ne jî þiqitî.
18. 18Sond be wî ji ayetê (nîþanê) perwerdekarê xwe yên herî mezin dît.
19. 19Vêca ma te (pûtên bi nav) Lat û Uzza dît?

20.20Û ê din yê sisiyan Menat jî (te dît?).
21.21Ma e nêr ji we re û ê mê jî ji me re ne?
22.22Ew gav, eva parvekirineke kêm e-ne di cîh de ye.
23.23Evên han tenê hin nav in ku we û bav û kalên we li wan kiriye. Xuda, tu delîlî pê danexistiye. Ew hey didin pey gumanê û tiþtê dilên wan dixwaze. Sond be, ji wan re ji perwerdekarê wan rêya rast hat.
24.24Ma qey ji mirov re her tiþtê bixwaze heye?
25.25Vêca a paþîn (axret) û a pêþîn (dunya) her ê Xuda ne.
26.26Di asîmana de çiqas feriþte hene ku mehdervaniya wan bikêra tu tiþtê nayê ji pêþtirî piþtî e ku Xuda bixwaze û pê qayil bibe re destûr bide.
27.27Bêguman ên ku bi axretê bawerî naynin ew feriþteyan bi navê mêyan nav dikin.
28.28Tu zanîna wan pê nîne. Ew hey didin pey gumanê. Guman jî bi tu awayî ciyê rastiyê nagire.
29.29Êdî tu ji ê ku piþt daye zikrê (þîretê) me û ji jîna dinê pêve nexwestiya rû bizivrîne.
30.30Ciyê gihîþtina wan ji zanînê evê haye. Bêguman perwerdekarê te, ê ku ji rêya wî þaþ bûye baþ dizane û ê ku rêya rast dîtiye jî baþ dizane.
31.31Tiþtê di asîmana û tiþtê di zemîn de ê Xuda ne; ji bo ku ew ên karê xerab dikin celat bike û ên qencî kirine jî bi a herî qenc xelat bike.
32.32Ewên ku ji gunehên biçûk pêve xwe ji gunehên mezin û nepakiyan dûr dikin. Bêguman perwerdekarê te fireh bexþîne. Ew, dema we ji zemîn çêtir û dema hûn di zikê dayîkên xwe de zarûk bûn, bi we zanatir e. Vêca hûn xwe bi xwe dernexin paqijiyê. Ew, bi ê xwe parastiye zanatir e.
33.33Vêca ma te ê rû liba xist dît?
34.34Û hindikî da û birrî.
35.35Ma qey zanîna penhanî li balê ye vêca ew dibîne?
36.36Ma qey ew bi tiþtê di rûpelê (kitêba) Mûsa de, nehatiye haydar kirin.
37.37Û Îbrahîmê ku (karê xwe) bêkêmasî pêk anî.
38.38Tu gunehkar barê gunehê yekî din hilnagire.
39.39Û ji mirov re ji tiþtê xebitiye pêve nîne.
40.40Û bêguman wê xebata xwe piþtre bibîne.
41.41Paþê wê (Xuda) bergîdanek bêkêmasî bidêyê.

42. 42Û bêguman dawî her bal perwerdekarê te ve diqede.
43. 43Û bêguman her ew dikenîne û digirîne.
44. 44Û bêguman her ew dimirîne û vedijîne.
45. 45Û bêguman her wî du cotê nêr û mê aferandiye.
46. 46Ji dilopek avik, dema tê avêtin.
47. 47Û bêguman aferandina paþîn jî her li ser wî ye.
48. 48Û bêguman her ew dewlemend dike û bi tiþtê daye qayil dike.
49. 49Û bêguman perwerdekarê (sitêrka bi nav) Þi´ra jî her ew e.
50. 50Û bêguman her wî (komela) Adê pêþîn têk bir.
51. 51Û (komela) Semûd jî; êdî ew neman.
52. 52Û berê jî komela Nûh. Lewra bêguman ew sitemkartir û serkêþtir bûn.
53. 53Û (bajarê komela Lût ên bi navê) Mutefîke jî serûbin kir.
54. 54Vêca tiþtê wan rapêçand li wan kir.
55. 55Êdî tu bi kîjan qenciyê perwerdekarê xwe dudilî dibî?
56. 56Evê han hiþyarkerekî ji hiþyarkerên pêþîn e.
57. 57(Qiyamet)a nêzik nêz bûye.
58. 58Ji Xuda pêve tu kes nikare wê diyar bike.
59. 59Vêca ma hûn ji vê peyva han sosret dibin?
60. 60Û hûn dikenin û hûn nagirîn?
61. 61Û hûn hêjî bi qeþmertî rû liba dixin?
62. 62Êdî hûn ji Xuda re serî deynin û hûn (wî) bihebînin.

## Chapter 54 (Sura 54)

1. 1Danê qiyametê nêz bûye û hîv du bûye.
2. 2Eger ew ayetek (nîþanek) bibînin, rû liba dixin û dibêjin ku: "Efsûneke diçe-namîne."
3. 3Wan derewand û dane pey dilxwaziyên xwe. Her kar ciyê xwe digre.
4. 4Sond be, tê de ji bû yerên (pêþiyan) tiþtê ji wan re bibe þîret (û dawî li nebaþiyan bîne) hatiye.
5. 5Hîkmetek ragihîþtî ye. Lê hiþyarker bikêr nehatin.
6. 6Êdî tu rû ji wan bizivrîne. Roja bangvan gazî bal tiþtekî pirr tirsnak ve bike.
7. 7Çav tirsiyayî ji goran dertên, ew herwekî kuliyên belawelabûyî ne.

8. 8Bal bangvan ve stûdirêjkirî dibezin; kafir dibêjin ku: "Eva rojekî pirr zor e."
9. 9Berî wan komela nûh derewand. wan bendeyê me derewand û gotin ku: "Dînek e" û ew hate qewirandin.
10. 10Vêca gazî perwerdekarê xwe kir ku: "Bêguman ez binketî me, êdî yarî bike."
11. 11Êdî me deriyê asîman bi avek gujane vekir.
12. 12Û me zemîn bi kaniyan dapiþiqandderkir; vêca av li ser karekî ku bera hatibû qedandin gihîþt hev.
13. 13Û me wî li ser (keþtiyek) xwey texte û bismar hilgirt.
14. 14Ew (keþtî) li ber çavê me diherike. Xelatek e ji bo ê ku hatiye înkar kirin.
15. 15Sond be, me wê, ayetek (îbretek) hiþt. Vêca gelo kesê þîret- îbret bigre heye?
16. 16Vêca ka ezabê min û hiþyarkerên min çewa bû?
17. 17Sond be, me Qur´anê ji bo xwendin û þîret girtinê hêsan kir, vêca ma gelo ê þîret bigre heye?
18. 18(Komela) Ad jî derewand. Vêca ezabê min û hiþyarkerên min çewa bûn?"
19. 19Bêguman me di roja hertimî bi peþk de bahozek zor dijwar bi ser wan de þand.
20. 20Ew mirovan ji cîh radike; ew bûn wekî qurme darê xurmê yên ji kokê rabûyî.
21. 21Vêca ezabê min û hiþyarkerên min çewa bûn?
22. 22Sond be, me Qur´anê ji bo xwendin û þîret gitinê hêsan kir, vêca ma gelo ê þîret bigre heye?
23. 23(Komela) Semûd jî hiþyarkeran derewand.
24. 24Vêca gotin: "Ma emê bidin pey mirovekî ji xwe? Bêguman em, ew gav di þaþîtî û dînîtiyê de ne."
25. 25"Ma ji nava me zikir (wehî û þîret) ji wî re hatiye dayîn? Ne, ew derewkarekî qure ye."
26. 26Wê sibê bizanbin ka kî derewkarê qure ye.
27. 27Bêguman em, devê ji bo sihêtiya wan diþînin; vêca tu li benda wan be û bîhna fireh nîþan de.
28. 28Û tu wan haydar bike ku bêguman av di nav wan de parvekirî ye. Her kes li ber dora xwe ya avê amade dibe.

29.29Vêca gazî hevalê xwe kirin; wî jî kêrê hilanî û wê serjêkir.
30.30Vêca ezabê min û hiþyarkerên min çewa bûn?
31.31Bêguman me yek qêrînek bi ser wan de þand; êdî ew bûn wek giyayê hiþkê hûrbûyî.
32.32Sond be, me Qur´anê ji bo xwendin û þîretgirtinê hêsan kir, vêca ma gelo ê þîret bigre heye?
33.33Komela Lût jî hiþyarkeran derewand.
34.34Bêguman me bayekî bi xulî û xîçik bi ser wan de þand ji pêþtirê malbata Lût. Me wan serê sibê rizgar kir.
35.35Qenciyek e ji cem me. Em, ê sipas dikin wuha xelat dikin.
36.36Sond be, (Lût) wan bi zor girtina me hiþyar kir, lê wan bi hiþyarkeran re xirecirê kir.
37.37Sond be, wan dest avêt mêvanên wî, êdî me çavên wan hilo kor kir (û me gote wan ku:) "Hûn ezabê min û hiþyariyên min tam kin."
38.38Sond be, serê sibê zû ezabek biryardayî bi wan de hat.
39.39Vêca hûn ezabê min û hiþyariyên min tam kin.
40.40Sond be, me Qur´anê ji bo xwendin û þîretgirtinê hêsan kir, vêca ma gelo ê þîret bigre heye?
41.41Sond be, ji malbata Fîr´ewn re jî hiþyarker hatin.
42.42Wan hemû ayet (nîþan)ên me derewand. Vêca me wan bi girtina serkeftiyê hêzdar girt.
43.43Ma kafirên we ji wanê han çêtir in? Yan ji wan re bêribûnek di kitêbên pêþîn de heye?
44.44Yan ew dibêjin ku: "Em tev yek in heyfsitan in."
45.45wê kom belav bibe û wê piþt bidinê birevin herin.
46.46Ne, danê qiyametê wadegeha wan e û ew dan tirsnaktir û taltir e.
47.47Bêguman sûcdarên gunehkar di þaþîtî û dînîtîkî har de ne.
48.48Roja ku wê li ser dev û rû di agir de bêne kiþandin (û wê bê gotin ku:) "Hûn girtina dojehê tam kin."
49.49Bêguman me her tiþtî bi pîvan aferandiye.
50.50Fermana me, her yek e wekî çavniqandineki e.
51.51Sond be, me gelek hemtayên we têk biriye, vêca gelo þîretgîrek heye?
52.52Her tiþtê wan kiriye di kitêban de ye.

53.53Her (kirinê) biçûk û mezin rêz bi rêz nivsandî ye.
54.54Bêguman xweparêz di bihiþt û çeman de ne.
55.55Li nik (Xudayê) serdestê hêzdar di civata rastiyê de ne.

## Chapter 55 (Sura 55)

1. 1Mihrîban.
2. 2Da hînkirinê Qur´an.
3. 3Aferandiye mirovan.
4. 4Pê eliman peyv-daxuyan.
5. 5Roj û hîv in bi pîvan.
6. 6Serî datînin giyah û daran.
7. 7Rakir wî asîman û danî mîzan (mêzîn-terazî).
8. 8Da ku hûn serkêþî nekin di mêzînan.
9. 9Û hûn kêþanê bi dadî rakin û kêm nekin mêzînan.
10. 10Zemîn jî wî daniye ji mirovan (hemû candar û mexlûqan re).
11. 11Tê de hene fêkî û darê xurma yên goþîdar.
12. 12Û teneyên bi ka û pel û gulê bi bîhn (rihan).
13. 13Nexwe hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
14. 14Wî mirov ji herîkî (hiþk) wekî qafik aferandiye.
15. 15Û cinna jî ji agirek bêdû aferandiye.
16. 16Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
17. 17Perwerdekarê herdû rojhelat û perwerdekarê herdû rojavaya ye.
18. 18Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
19. 19Herdû deryayan berda ku digihên hev.
20. 20Di navbera wan de perdekî heye ku tevlîhev nabin.
21. 21Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
22. 22Ji wan morî û mircan dertên.
23. 23Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
24. 24Keþtiyên bilindê wekî çiyayan ku di deryayan de diherikin jî ên wî ne.
25. 25Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
26. 26Her kesê li ser rûyê zemîn e, namîne.
27. 27Tenê rûyê perwerdekarê te yê xwey meznahî û rûmet dimîne.

28.28Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
29.29Ên dî asîmana û zemîn de her ji wî dixwazin. Her roj ew di karekî de ye.
30.30Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
31.31Emê ji we re - gelî giraniyê (zemîn cinn û mirov!) - vala bibin.
32.32Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
33.33Gelî koma cinn û mirova! eger hûn dikarin ku ji çarmedorê asîmana û zemîn derên, êdî hûn derkevin. Lê hûn tenê bi hêzek xurt dikarin derkevin.
34.34Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
35.35Wê alav û dûyê ji agir bi ser we de bê þandin; êdî hûn nikarin yariya havûdin jî bikin.
36.36Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
37.37Vêca gava asîman qeliþî, êdî wek donê rengin (kesk û sor û ser) rengsorî bû (wekî hespê kumeyt ku reng bi reng dibe).
38.38Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
39.39Êdî wê rojê ne mirov û ne jî cinn ji gunehê xwe nayê pirsîn.
40.40Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
41.41Sûcdarên gunehkar bi sikûmên xwe tên nasîn vêca bi pocax û piyan tê girtin.
42.42Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
43.43Dojeha ku sûcdarên gunehkar wê diderewînin eva haye.
44.44Ew di navbera wê û ava pirr kelandî de diçin û tên.
45.45Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
46.46Ji kesê ku ji þûna (meqamê) perwerdekarê xwe bitirse re du bihiþt hene.
47.47Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
48.48Ew herdû (bihiþt) xwedan cuqliyê rengîn in.
49.49Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
50.50Di wan de du kanî diherikin.
51.51Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
52.52Di wan de ji her fêkiyî du cot hene.
53.53Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
54.54Ew li ser doþekên ku betanê wan ji hevrîþimê qalind paldayî ne, û çinîna (fêkiyê) bihiþta li ber desta ye.
55.55Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?

56. 56Di wan de (jinên) tenê li mêrên xwe dinêrin hene ku berî wan ne tu mirov û ne tu cinn têkilî wan nebûne.
57. 57Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
58. 58Ew (jin) her wekî yaqût û mircanan e.
59. 59Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
60. 60Ma bergîdana qenciyê ji qenciyê pêve heye?
61. 61Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
62. 62Ji wan (du bihiþta) wêdetir du bihiþtê din jî hene.
63. 63Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
64. 64Herdû jî çîlhêþîn in.
65. 65Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
66. 66Di wan de du kanî tim dizên hene.
67. 67Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
68. 68Di wan de fêkî û darê xurma û hinar hene.
69. 69Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
70. 70Di wan de jinên xuy xweþ û rû xweþik hene.
71. 71Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
72. 72Jinên çavbelek ên ku di konan de parastî ne.
73. 73Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
74. 74Berî wan ne tu mirov û ne jî tu cinn têkilî wan nebûne.
75. 75Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
76. 76Li ser xaliyên kesk û tejikên rind paldayî ne.
77. 77Êdî hûn kîjan qenciyê perwerdekarê xwe diderewînin?
78. 78Pirr pîroz e navê perwerdekarê te yê xwey meznahî û rûmet!

## Chapter 56 (Sura 56)

1. 1Gava (qiyamet)a rastîn çêbibe.
2. 2Ji çêbûna wê re tu derew nîne.
3. 3(Ji hina re) nizimker (û ji hina re jî) bilindker e.
4. 4Gava zemîn bi hejek zor bê hejandin.
5. 5Û çiya hûr hûr bibin.
6. 6Êdî bibin xulîkî berbayî.

7. 7Û hûn bibin sê deste.
8. 8Hevalê destê restê, çi heval in ên destê çepê!
9. 9Û hevalê destê çepê çi heval in ên destê çepê!
10. 10Ên pêþketî pêþketî ne.
11. 11Ên nêzbûyî evên han in.
12. 12Di bihiþtê xweþiyan de ne.
13. 13Komekî pirr ji pêþiyan.
14. 14Û hinekî jî ji paþiyan.
15. 15Li ser sedrê neqþandî ne.
16. 16Li ser wan li hember hev rûniþtî ne.
17. 17Li dora wan hin nûciwanên bêmirin digerin;
18. 18Bi tas û misîn û þerbikên ji serkaniyan (tijebûyî)
19. 19Ji wê (meyê) ne sergêj dibin û ne serxweþ dibin.
20. 20Û fêkiyên ku ji xwe re hildibjêrin.
21. 21Û goþtê çûka ku dilê wan diçê.
22. 22Û jinên çavbelek (ji wan re ne).
23. 23Ku ew wekî moriyê parastî ne.
24. 24Bergîdana tiþtê (li dinê) kirine.
25. 25Tê de, ne tiþtê beredayî dibihîzin û jî gunehkariya.
26. 26Ji pêþtirê gotina: "Silav Silav."
27. 27Hevalê destê rastê çi heval in ên destê rastê!
28. 28Di nav (darê) gelyaza yên cuqlîtewandiyê bêdirrî de ne.
29. 29Û (darê) mûzê yên li ser hev hûnandî de ne.
30. 30Û li binê siyê dirêjbûyî ne.
31. 31Û di avê herikandî de ne.
32. 32Û di nav gellek fêkiyan de ne.
33. 33Ne tên birrîn û ne jî qedexe kirin.
34. 34Û di nav jinên bilindhêja de ne.
35. 35Bêguman me wan (jinan) hê ji nû ve çêkiriye.
36. 36Vêca me wan kiriye keçên xama.
37. 37Evîndarên hemsal in.
38. 38Ji bo hevalê destê rastê ne.
39. 39Komekî pirr ji pêþiyan.

40.40Û komekî jî ji paþiyan.
41.41Hevalê destê çepê çi heval in ên destê çepê!
42.42Di nav germa agir û ava kelandî de ne.
43.43Û siyî ji dûyê reþ de ne.
44.44Ne hênik e û ne rind e.
45.45Bêguman ew berî vî qeþmer bûn.
46.46Û wan hey li ser gunehê mezin (kufr û pûtperestiyê) didomand.
47.47Û wan digot ku: "Ma gava em bimirin û bibin xulî û hestî ma emê bera bêne rakirin?"
48.48"Û bav û kalên me yên pêþîn jî?"
49.49Tu bêje ku: "Bêguman pêþînî û paþînî tev."
50.50"Danê roja xuya wê her bêne civandin."
51.51Paþê hûn gelî rêþaþên derewkar!
52.52Hûnê ji dara kerratiyê jî hey bixwin.
53.53Vêca hûnê zika jê tije kin.
54.54Êdî hûnê di ser re jî ava kelandî vexwin.
55.55Vêca hûnê wek vexwarina devên nexweþ ên hergav tî (yan axa ku ji avê têr nabe) wexwin.
56.56Roja xelat û celatê rozî û xwarina wan evê han e.
57.57Me we aferandiye, vêca çima hûn rast nadêrin?
58.58Vêca ma hûn tiþtê (avika) davêjin dibînin?
59.59Ma hûn we diaferînin yan em aferandekar in?
60.60Me mirinê di navbera we de (bi pîvan) parve kiriye û bi pêþiya me nayê ketin;
61.61Ku em we bi hinekî wekî we biguherînin û em we di tiþtê hûn nizanin de çêkin.
62.62Sond be we aferandina pêþîn zaniye, vêca çima hûn nafikirin-þîret nagirin?
63.63Vêca ma hûn tiþtê dajon (çandiniyê xwe) dibînin?
64.64Ma hûn wî dajon-çot dikin yan em cotkar in?
65.65Eger me bixwesta, me yê wî bikirna ka-bêtene vêca hûnê sosret bimana.
66.66(We yê bigotana:) "Bêguman em, çandiniyê me çû-deyndar man."
67.67"Ne, ji xwe em bêpar in."

68.68Vêca ma hûn ava ku vedixwin dibînin?
69.69Ma we wê ji ewra barandiye yan em dibarînin?
70.70Eger me bixwesta me yê wê (avê) tal bikirna, êdî ma çima hûn sipas nakin?
71.71Vêca ma hûn agirê ku dertînin-pêdixin dibînin?
72.72Ma we dara wî (agirî) çêkir yan em çêdikin?.
73.73Me wî (agirî) kiriye bîrxistinî û xweþîkî ji bo rêwiyan (û hewcedaran) re.
74.74Êdî tu navê perwerdekarê xwe yê mezin pak bêrî bidêre.
75.75Vêca ne, ez sond dixwim bi þûnê sitêrkan (ku di wan deran de diweþin-dikevin).
76.76Û bêguman ew (sond) sondekî mezin e-eger hûn bizanbin-.
77.77Bêguman ew Qur´anekî birûmet e.
78.78Di kitêbekî parastî de ye.
79.79Ji ên paqijkirî pêve têkilî wê nabin.
80.80Daxistinekî hin bi hin ji perwerdekarê hemû cîhana ye.
81.81Vêca ma hûn vê peyva han biçûk dibînin-diderewînin?
82.82Û hûn sipasê roziya xwe dikin ku hûn bera diderewînin?
83.83Vêca ma çima gava (can) digihîje qirikê (hûn nikarin tiþtekî pê bikin?).
84.84Û hûn wê gav hey dinêrin.
85.85Û em ji we pê nêziktir in, lê belê hûn nabînin.
86.86Vêca eger hûn ji dil bawer nakin (ku hûnê werin celat kirinê);
87.87Eger hûn bera rastgon e çima hûn wî (canî) venagerînin?
88.88Vêca heçî eger ew ji ên nêzbûyî be;
89.89Êdî dilxweþî û gulê xweþbîhn (rihan) û bihiþta xweþiyan (jê re ye).
90.90Û heçî eger ew ji hevalê destê rastê be;
91.91Êdî ji hevalê destê rastê xweþî ji te re be.
92.92Û heçî eger ew ji derewkarên rêþaþ be;
93.93Êdî rozî û xwarinên ji ava kelandî (jê re ne).
94.94Û emê wî têxin dojehê-wî biþewitînin.
95.95Bêguman rastiya herî rast eva haye.
96.96Êdî tu navê perwerdekarê xwe yê mezin pak bêrî bidêre.

## Chapter 57 (Sura 57)

1. 1Hemû tiþtê di asîmanan û zemîn de, Xuda (ji kêmasiyan) pak bêrî dêrandine. Serkeftiyê hîkmetdar her ew e.
2. 2Mulkê asîmanan û zemîn her ê wî ye. Vedijîne û dimirîne. Ew bi her tiþtî dikare.
3. 3Ê pêþîn û ê paþîn û ê xuya û ê veþarî her ew e. Ew zanayê bi her tiþtî ye.
4. 4Ew e ê ku asîmanan û zemîn di þeþ rojan de aferandiye paþê ser text vegirtiye. Ew, tiþtêdi zemîn de diçe û tiþtê jê dertê û tiþtê ji asîman dadikeve û tiþtê tê bilind dibe dizane. Hûn li kuder bin ew bi we re ye. Xûda,tiþtê hûn dikin baþ dibîne.
5. 5Mulkê asîmanan û zemîn her ê wî ye. Hemû kar her bal Xuda ve vedigerin.
6. 6Ew, þevê di rojê radike û rojê ji di þevê radike. Ew, zanayê bi veþariyê di singan de ye.
7. 7Hûn bi Xuda û pêxemberê wîbawerî bînin û ji tiþtê ku (Xuda) We kiriye caniþînên wî bidin. Vêca ên ji we bawerî anîne û (mal) dane, ji wan re xelatek mezin heye.
8. 8Ma çi bûye ji we ku hûn bi Xuda baweri naynin, tevî ku pêxember gazî we dike ji bo hûn bi perwerdekarê xwe bawerî bînin û bi rastî eger hûn bera bawermend in ji we peymanekî zexm jî girtiye?
9. 9Ew e ê ku ayetn diyar li ser bendeyê xwe dadixe ji bo ku we ji tarîtiyan derxîne bal ronahiyê ve. Bêguman Xuda, bi we dilovînê dilovan e.
10. 10Ma çî bûye ji we ku hûn di rêya Xuda de (mal) nadin, tevî ku mîrata asîmanan û zêmin tev a Xuda ye? Ên ji we ku berî vegirtin (a Mekkê mal) dane û þer kirine (bi ên din re) nabin yek. Ewên han, ji ên ku paþê dane û þer kirine paye mezintir in. Xuda, a herî qenc ji tevan re jî wade daye. Xuda, bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.
11. 11Kî ye ku deynekî rind bi deyndarî dide Xuda? Vêca wê hey jê re pirrî pirr bike, û jê re xelatekî birûmet jî heye.
12. 12Roja tu, mêrên bawermend û jinên bawermend dibînî ku ronahiya wan li pêþiya wan û li rastê wan dimeþe. Îro mizgîn ji we re hin bihiþt in ku çem ji binê wan diherikin, ew hertimî tê de ne. Rizgariya mezin her eva haye.

13.13Roja ku mêrên durû û jinên durû, ji ên bawerî anîne re dibêjin: "Hûn li me binêrin ku em ji ronahiya we bigrin." Ji wan re tê gotin ku: "Hûn li paþiya xwe vegerin vêca li ronahiyê bigerin." Êdî di navbera wan de bendekî hat danîn ku jê re derîkî heye. Hundirê wî tê de dilovanî û dervayê wî ji ber ve ezab heye.

14.14Gazî wan dikin ku: "Ma em jî ne bi we re bûn?" Gotin: "Belê çewa (hûn bi me re bûn) lê belê xwe gunehkar kir û hûn li benda (nebaþiyan) bûn û we dudilî kir û dilxwaziyan we xapand; heya ku fermana xuda xapand."

15.15Êdî îro, ne ji we û ne ji ên ku bûne kafir tu gerew nayê sitendin. Hewyegeha we agir e. Ew ji we re çêtir e. Çi þûnve gerek ne rind e!

16.16Ma qey ji ên bawerî anîne re dem nehatiye ku dilên wan ji ber bîranîna Xuda û rastiya ku daxistiye, bitirsin; û bira ew nebin wekî ên ku berê kitêb ji wan re hatiye dayîn; vêca demek dirêj di ser wan re borî êdî dilên wan hiþk bû.Pirrî ji wan jî ji rêya rsat derketî ne.

17.17Hûn baþ bizanbin ku Xuda, zemîn pirþî mirina wê vedijîne. Bi rastî me ayeten ji we re daxuyandiye hêvî heye ku hûn tê hiþ bibin-xwe rabigrin.

18.18Bêguman mêrên sedeqe didin û jinên sedeqe dinin û bi dennekîrind deyndarî didin Xuda, ji wan re pirrî pirr tê kirin û ji wan re xelatekî birûmet heye.

19.19Ên bi Xuda û pêxemberê wî bawerî anîne, li cem perwerdekarê wan,ên pirr rastgo ûþehîd her ewênhan in. xelata wan û ronahiya wan ji wan re ye. Ên kafir bûne û ayetên me derewandine, ehlê dojehê her ewên han in.

20.20Hûn baþ bizanbin ku jîna dinê leystik û hewes û xemil-xwe-þîkî û pesn û quretiya we ya di nava we de û pirr xebata di mal û zarûkan de ye; wekî barana ku giyayê wê kafiran dike sosretê, paþê hiþk dibe vêca tu wî dibînî ku zer bûye, paþê dibe qirþikê hûrik. Di axretê de jî ezabekî dilwar û bexþin û qayilbûna ji Xuda heye. Jîna dinê, tenê pertalê xapandinê ye.

21.21Hûn, bal bexþinek ji perwerdekarê xwe û bihiþtekî ku firehiya wê wek firehiya asîmana û zemîn e ku ji ên bi Xuda û pêxemberên wî bawerî anîne re hatiye amade kirin, ve bazdin. Evê han qenciya Xuda ye dide kesê ku ew bixwaze. Xuda,xwey genciyek mezin e.

22. 22Her musîbeta di zemîn de û di we bi xwe de .êbibe ew, berî em wê biaferînin her di kitêbekî de(nivsandî) ye. Bêguman evê han li ser Xuda pirr hêsan e.
23. 23Ji bo ku hûn li ser tiþtê ji destê we diçe xemgîn nebin û hûn bi tiþtê daye we pirr dilþa nebin. Xuda ji her qureyê navdixwe dide hiz nake.
24. 24Ewên ku timatî dikin û bi mirovan jî timatiyê ferman dikin. kî rû bizivrîne, êdî bêguman bêhewceyê hêjayê pesn her Xuda ye.
25. 25Sond be, me pexemberên xwe bi nîþanên xuya þand û me bi wan re jî kitêb û mêzînê daxist ji bo ku mirav bi dada rastîn tevbigerin. Me hesin jî gellek kar heye daxist; ji bo ku Xuda bizanbe ka kî bi penhanî yariya wî û pêxemberê wî dike. Bêguman Xuda hêzdar e serkeftî ye.
26. 26Sond be, me Nûh û Îbrahîm þand û me pêxemberî û kitêbê di nav nifþa wan de çêkir; êdî hina ji wan rêya rast dît û pirrî wan jî ji rêya rast derketine.
27. 27Paþê me pêxemberên xwe li ser þopa wan þand û me Îsa kurê Meryemê jî li ser þopa wan þand û me Încîlê jî dayê û me di dilên wanê dane pey wî de dilovînî û dilovaniyê çekir. Wan ji ber xwe rahiptiyê (dest kiþandina ji xweþiyê dinê) çêkir ku me wê li ser wan ferz nenivisîbû. Tenê ji bo qayilbûna Xuda (wê derxistin); lê wan wê bitewayî pêk neanî. Êdî me, ewên ji wan bawerî anîn xelata wan da wan. Pirrî ji wan jî ji rêderketî ne.
28. 28Gelî ên bawerî anîne! hûn xwe ji Xuda biparezin-bitirsin û bi pêxemberê wî bawerî bînin ku ew du para ji dilovaniya xwe bide we û ji we re ronahiyek çêke ku hûn pê bimeþin û ew (gunehên we) ji we re bibexþîne. Xuda bexþendekar e dilovan e.
29. 29Ji bo ku ehlê kitêbê baþ bizanbin ku ew bi tu tiþt ji qenciya Xuda nikarin û bêguman qencî her bi destê Xuda ye, kî bixwaze dide wî. Xuda xwey qenciyek mezin e.

## Chapter 58 (Sura 58)

1. 1Bi astî Xuda, gotina wê (pîreka) ku derbareê mêrê xwe de bi te re xirecirê dikir û giliyê xwe bal Xuda ve dikir bihîst. Xuda, hevpeyvîna we seh dike. Lewra bêguman Xuda baþ seh dike baþ dibîne.

2. 2Ji we ên ku pîrekên xwe wek diyên xwe dibînin (ji wan re dibêjin ku: "Pîþta te wek ya diya min e") ew (pîrekên wan) ne diyên wan in. Diyên wan her ew in ku wan welidandine. Bêguman ew gotinê nelirê û derewa dibêjin. Bêguman Xuda, têbihûr e bexþendekar e.
3. 3Ewên ku jinên xwe wek diyê xwe dibînin, paþê ew li gotina xwe dadigerin, êdî berî ew bigihên hev, azadkirina dîlekî (divê). Hûn bi vî han tên þîret kirin. Xuda bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.
4. 4Vêca ê ku peyda neke, êdî berî ew bigihên hev, du meha li pey hev rojî girtin (divê). Vêca ê ku nikarbe êdî xwarin dayîna þêst belengazî (divê). Evê han ji bo ku hûn bi Xuda û pêxemberê wî bawerî bînin e. Evên han tixûbê Xuda ne. Ji kafiran re ezabekî bi jan heye.
5. 5Bêguman ên ku li hember Xuda û pêxemberê wî dertên ew hatin sernigûn kirin çewa ku ên berî wan hatin sernigûn kirin, tevî ku me ayetên xuya daxistiye. Ji kafiran re ezabekî nizimker heye.
6. 6Roja ku wê Xuda wan teva rake, vêca wê wan bi tiþtê kirine haydar bike, ku Xuda wî jimartiye û wan wî ji bîr kiriye. Xuda danasê li ser her tiþtî ye.
7. 7Ma tu nabînî ku bêguman Xuda,tiþtê di asîmana û tiþtê di zemîn de dizane. Sê kesê bi dizî bi hev re biaxivin ê çarê wan her ew e û pêncên (ku bi dizî bi hev re biaxivin) ê þeþê wan her ew e. Ji vî kêmtir an pirrtir; ew li kuder bin ew her bi wan re ye. Paþê roja qiyametê wê wan bi tiþtê kirine haydar bike. Bêguman Xuda zanayê bi her tiþtî ye.
8. 8Ma tu li ewên ku ji dizî axivtinê hatibûn qedexe kirinê nanêrî ku ew paþê li tiþtê jê hatibûn qedexe kirin difetilin û ew bi gunehkarî û neyarî û bêfermaniya pêxember bi hev re bi dizî dipeyivin. Gava ew tên bal te, ew te bi tiþtê Xuda, te pê silav nekiriye silav dikin, ew di dilê xwe de dibêjin ku: "Ma çima Xuda me bi tiþtê em dibêjin nade ezabê? Dojeh besî wan e. Ewê têkevinê-tê biþewiyin. Vêca ew der çi þûnvegerek nerind e!
9. 9Gelî ên bawerî anîne! gava we bi hev re bi dizî axivt, êdî hûn bi gunehkarî û neyarî û bêfermaniya pexember nepeyivin. Hûn bi baþî û xweparêziyê bipeyivin, û hûn ji Xudayê ku hûnê bal ve bêne civandin xwe biparêzin-bitirsin.

10.10Bêguman bi dizî axivtin her ji pelîd e, ji bo ku ên bawerî anîne xemgîn bibin; bêdestûra Xuda tu ziyan nagihê wan. Vêca bawermend bira her xwe bispêrin Xuda.
11.11Gelî ên bawerî anîne! gava ji we re hat gotin ku: "Hûn di civata de cîh fireh bikin" vêca hûn cîh fireh bikin ku Xuda jî ji we re fireh bike. Gava ji we re hat gotin ku: "Rabin" vêca hûn jî rabin ku Xuda, ji we ên bawerî anîne û ên zanîn ji wan re hatiye dayîn bi payeyan bilind bike. Xuda bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.
12.12Gelî ên bawerî anîne! gava hûn bi dizî bi pêxember re bipeyivin, vêca hûn berî bi dizî peyivîna xwe sedeqekî bidin. Evê han ji we re çêtir û paqijtir e. Vêca eger we peyda nekir êdî bêguman Xuda bexþendekar e dilovan e.
13.13Ma qey hûn (ji xizaniyê) tirsiyan ku hûn berî bi dizî peyivîna xwe sedeqa bidin? Vêca dema we nekir û Xuda jî li we borî êdî hûn limêjê rast bikin û zekatê bidin û peyrewtiya Xuda û pêxemberê wî bikin. Xuda û pêxemberê wî bikin. Xuda bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.
14.14Ma tu li ewên ku komelekî ku Xuda li wan hêrs bûye dost girtine nanêrî? Ew ne ji we ne û ne ji wan in. Ew, tevî dizanin jî li ser derewa sond dixwin.
15.15Xuda, ji wan re ezabekî zor dijwar amade kiriye. Lewra bêguman ew, tiþtê dikirin pirr pîs e.
16.16Wan sondên xwe ji xwe re kir mertal, vêca pêþî li rêya Xuda girtin. Êdî ji wan re ezabekî nizimker heye.
17.17Li hember Xuda, ne malên wan û ne zarûyên wan bi tu tiþtî bikêra wan nayên. Ewên han hevalê agir in. Ewê tê de hertimî bimînin.
18.18Roja ku wê Xuda wan teva (ji gora) rake vêca çewa ji we re sond dixwin jê re jî sond dixwin û ew guman dikin ku li ser tiþtekî ne. Hay jê bin! bêguman ew, derewkar her ew in.
19.19Pelîd ketiye qebelê wan-bi ser wan ketiye vêca bîranîna Xuda bi wan daye ji bîr kirin. Ewên han partiya pelîd in. Hay jê bin! bêguman ên ziyankar her partiya pelîd in.
20.20Bêguman ên ku li hember Xuda û pêxemberê wî dertên, ewên han di nav binketiyên riswabûyî de ne.
21.21Xuda ferz nivisiye ku: Ez û pêxemberên xwe emê hey bi ser kevin. Lewra bêguman Xuda hêzdar e serkeftî ye.

22.22Tu, komelekî ku bi Xuda û roja dawîn bawerî tînin peyda nakî ku ew ji ên li hember Xuda û pêxemberê wî derketine hiz bikin; herçend ew bavên wan yan kûrên wan yan birayên wan yan jî ji êl û eþîra wan bin. Evên han Xuda, di dilên wan da bawerî nivisiye û wan bi canek (yariyek) ji xwe zeximandiye. Wê wan têxe hin bihiþtên ku çem ji binê wan diherikin. Wê hertimî tê de bimînin. Xuda ji wan qayil bûye û ew jî je qayil bûne. Evên han partiya Xuda ne. Hay jê bin! bêguman ên rizgarbûyî her partiya Xuda ne.

## Chapter 59 (Sura 59)

1. 1Ê di asîmana û ê di zemîn de her Xuda pak bêrî dêrandine. Serkeftiyê hîkmetdar her ew e.
2. 2Ew e ê ku ji ehlê kitêbê ên kafir bûne ji bo civîna pêþîn wan ji warên wan deranî. We guman nedikir ku ew derên, wan jî guman dikir ku wê kelehên wan bera wan ji Xuda biparêze. Vêca Xuda ji derevekî ve hate wan ku wan qet guman nedikir û tirsê avêt dilên wan ku ew xaniyên xwe bi destê xwe û bi destê bawermendan xera dikin. Êdî hûn-gelî xwedan hiþan-ders û îbret bigrin.
3. 3Eger Xuda bi derketinê li ser wan hukim nekirbûna wê wan di dinê de bida ezabê. Ji wan re di axretê de ezabê agir heye.
4. 4Evê han ji ber ku bi rastî wan neyartiya Xuda û pêxemberê wî kir. Kî neyartiya Xuda bike, êdî bêguman Xuda ezab dijwar e.
5. 5Her darê xurma ku we birrand yan we wan li ser kurmê wan hiþt êdî ew bi destûra Xuda ye; û ji bo ku ew jirêderketiyan celat bike.
6. 6Her tiþtê Xuda (bê ceng) ji wan sitendiye daye pêxemberê xwe, êdî we li serê ne tu hesp û ne tu deve daye-hinda kiriye. Lê belê Xuda, pêxemberên xwe bi ser ê bixwaze dixe. Xuda bi her tiþtî dikare.
7. 7Her tiþtê Xuda ji ehlê welatan distîne dide pêxember xwe, êdî ew ji Xuda û ji pêxember û ji merivên nêz (malbata pêxember) û sêwî û belengaz û rêwiyên li rê mane re ye; ji bo ku ew (mal) tenê di nava dewlemendên wede, nebe (sermiyanekî dest bi dest dibe). Tiþtê pêxember da we êdî hûn wî bigrin û tiþtê we jê dûr kir jî êdî hûn jê dûr bimînin. Hûn xwe ji Xuda biparêzin. Lewra bêguman Xuda ezab dijwar e.

8. 8Ji xizanên koçber yên ku ji warên xwe û malên xwe hatine derxistin ku ew li qencî û qayilbûna Xuda digerin û yariya Xuda û pêxemberê wî dikin re ye jî. Ên rasgo her ewên han in.
9. 9Û ewên ku berî wan, war û baweriyê amade kirin, ew ji ên ku bal wan ve koçber bûne hiz dikin û ew di dilên xwe de tu hewcetî bi tiþtê ji wan re hatiye dayîn nabînin û her çend hewcetiya wan hebe jî ew (birayên xwe) di ser xwe re digrin. Kî ji çikûsî û dexesiya xwe bê parastin êdî ên rizgarbûyî her ewên han in.
10. 10Ewên ku di pey wan de hatin dibêjin: "Perwerdekarê me! tu ji me re û ji birayên me yên ku bi bawerî berî me derbas bûne re bibexþîne û tu di dilên me de tu kînekî ji ên bawerî anîne re çêneke. Perwerdekarê me! bêguman tu dilovîn î dilovan î."
11. 11Ma tu li ewên durûtiyê dikin nanêrî ku ew ji birayên xwe yên ji ehlê kitêbê ku kafir bûne re dibêjin: "Sond be, eger hûn (ji Medînê) bêne derxistin emê jî hey bi we re derên û em derbareê we de tu car peyrewtiya kesî nakin, û eger bi we re þer bête kirin, emê her yariya we bikin." Xuda danas e ku bêguman ew derewkar in.
12. 12Sond be eger ew bêne derxistin, ew bi wan re dernakevin û sond be eger bi wan re bête þer kirin, ew yariya wan nakin û sond be eger yariya wan bikin jî ewê pîþt bidinê birevin paþê ew nayên yarî kirin.
13. 13Tirsa we di dilên wan de ji a Xuda zortir e. Evê han ji ber ku ew bi rastî komelekîne kûr tê nagihên.
14. 14Ew bi tevayî bi we re þer nakin, tenê di bajarên bi kelehên zexm dorgirtî de yan ji pîþt dîwaran ve (ew bi we re þer dikin). Þerê wan di nav wan de dijwar e. Tu wan teva yek guman dikî lê dilên wan cûrbe cûre. Evê han ji ber ku ew bi rastî komelekî ne xwe ranagirin.
15. 15Wek mînaka ên ji nêz ve berî wan ku celata karê xwe tam kirin. Ji wan re ezabekî bi jan heye.
16. 16Wek mînaka pelîd ku gava ji mirov re dibêje: "Kafir bibe." Vêca çi gava kafir dibe, ew dibêje ku: "Bêguman ez ji te bêrî me. Lewra bêguman ez ji Xudayê perwerdekarê cîhanan ditirsim."
17. 17Vêca paþiya herduyan bû ku ewê di agir de hertimî bimînin. Celata sitemkaran eva haye.

18. 18Gelî ên bawerî anîne! hûn xwe ji Xuda biparêzin-bitirsin û bira herkes binêre ka ji sibê re çi bi pêþ xistiye? Hûn xwe ji Xuda biparêzin-bitirsin. Lewra bêguman Xuda bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.
19. 19Hûn nebin wek ên ku Xuda ji bîr kirine, vêca (Xuda) jî wan bi wan daye ji bîr kirin. Ên jirêderketî her ewên han in.
20. 20Ehlê agir û ehlê bihiþtê nabin yek. Ên rizgarbûyî her ehlê bihiþtê ne.
21. 21Eger me vê Qur´ana han li ser çiyakî daxistina, te yê wî bidîtana ku ew ji tirsa Xuda serpêlê jihevbelabûyî ye. Em van mînakên han ji mirovan re didin hêvî heye ku bifikirin.
22. 22Ew Xuda ye ê ku ji wî pêve tu Xuda nînin. Zanayê bi penhan û peyda ye. Ew mihrîban î dilovan e.
23. 23Ew Xuda ye ê ku ji wî pêve tu Xuda nînin. Þehînþah e, pakbêrî ye, (xwedan) xweþî ye, pêbawer e, danasê biewle ye, serkeftî ye, serdestê bilind e, mezin e. Xuda ji tiþtê ew dikin þirîk pak bêrî ye.
24. 24Ew Xuda ye, aferandekar e, çêker e, sikûm û rûçikan dide. Navên herî xweþîk ê wî ne. Tiþtê di asîmana û zemîn de wî pak bêrî didêrin. Serkeftiyê hîkmetdar her ew e.

## Chapter 60 (Sura 60)

1. 1Gelî ên bawerî anîne! hûn neyarê min û neyarê xwe bi dostî negirin. Tevî ku ew bi rastiya ji we re hatiye kafir bûne hûn ji wan hiz dikin. Ji ber we bi Xudayê perwerdekarê xwe bawerî aniye, ew, we û pêxember (ji warên we) dertînin. Eger hûn ji bo cîhada di rêya min de û xwestina qayilbûna min derketine (êdî hûn wan dost negirin). Hûn bi dizî ji wan hiz dikin tevî ku ez tiþtê hûn vediþêrin û tiþtê hûn eþkere dikin tev dizanim. Kî ji we vî bike êdî bi rastî wî rêya rast þaþ kiriye.
2. 2Eger ew bi ser we kevin ewê ji we re bibin neyar û wê destên xwe û zimanên xwe bi xerabî dirêjî we bikin û ew hiz dikin ku xwezî hûn jî kafir bibûna.
3. 3Ne mervatiyên we û ne jî zarûyên we qet bikêra we nayên. Roja qiyametê wê navbera we ji hev biqetîne. Xuda, tiþtê hûn dikin baþ dibîne.

4. 4Bi rastî ji we re di Îbrahîm û ên pê re de nimûnekî rind heye. (Di bîr bînin) dema ji komela xwe re gotin ku: "Bêguman em ji tiþtê hûn bêyî Xuda dihebînin bêrî ne. Em ji we bawer nakin û di navbera me û we de neyartî û xeþma hertimî xuya yekta bawerî bînin." Tenê gotina Îbrahîm ji bavê xwe re (ne tê de; ku gotê:) "2Sond be ezê ji te re bexþînê bixwazim û li hember Xuda ji te re tu tiþt di destê min de nîne." Perwerdekarê me! me her xwe sipartiye te û em her bal te ve vegeriyane û veger her bal te ve ye."
5. 5"Perwerdekarê me tu me ji ên kafir bûne re neke sihêtî û tu ji me re bibexþîne perwerdekarê me! Bêguman tu, serkeftiyê hîkmetdar her tu yî."
6. 6Sond be, ji we re di wan de nimûnekî rind heye ji ê ku hêviya Xuda û roja dawîn dike re. Kî rû bizivrîne êdî bêguman Xuda, dewlemendê hêjayê pesn her ew e.
7. 7Dibe ku Xuda di nava we û ên we neyartiya wan dikir de hizkirinekî çêke. Xuda baþ dikare. Xuda bexþendekar e dilovan e.
8. 8Xuda we ji ên ku di dîn de bi we re þer nekirine û we ji warên we dernexistine para nade ku hûn bi wan qencî bikin û bi wan re bi dad û rastî tevbigerin. Lewra bêguman Xuda ji ehlê dad û rastiyê hiz dike.
9. 9Bêguman Xuda we tenê ji ên ku di dîn de bi we re þer kirine û we ji warên we deranîne û li ser derxistina we piþtvaniya hev kirine, para dide ku hûn wan dost bigrin. Kî wan dost bigre, êdî sitemkar her ewên han in.
10. 10Gelî ên bawerî anîne! gava jinên bawermend bi koþberî hatin bal we, vêca hûn wan sihêtî bikin. Xuda baweriya wan çêtir dizane. Vêca eger we wan (jinan) bawermend zanî, êdî hûn wan bal kafiran ve nezivrînin. Ne ew (jin) ji wan re durust in û ne jî ew (kafir) ji wan (jinan) re durust in. Hûn tiþtê wan (kafiran) daye bidin wan. Tu guneh li ser we nîne ku hûn mehr bikin gava hûn destmuza (mehra) wan bidin wan. Hûn bi dawa jinên (xwe yên) kafir negirin û tiþtê we daye bixwazin û bira ew jî tiþtê dane bixwazin. Hukmê Xuda evê han e. Xuda di navbera we de hukim dike. Xuda zana ye hîkmetdar e.
11. 11Eger tiþtekî ji jinên we ji dest we çû bal kafiran vêca hûn bi ser ketin, êdî hûn biqasî tiþtê dane bidin ên ku pîrekên wan ji dest wan çûne. Hûn xwe ji Xudayê ku hûn pê bawermend in biparêzin-bitirsin.

12. 12Pêxember! gava jinên bawermend hatin bal te ku bi te re bey´et kin ku: Bi Xuda re tu tiþtî nekin û zarûyên xwe nekujin û di nav pêþî û lingên xwe de derewa bi hev nexim neynin û di karê qenc de bêfermaniya te nekin, êdî tu jî bi wan re bey´et bike, û ji Xuda, ji wan re bexþînê bixwaze. Lewra bêguman Xuda bexþendekar e dilovan e.
13. 13Gelî ên bawerî anîne! hûn komelekî ku Xuda li wan hêrs bûye dost negirin. Bi rastî ew ji axretê bêhêvî bûne çewa ku kafir ji ehlê goran bêhêvî bûne.

## Chapter 61 (Sura 61)

1. 1Tiþtê di asîmanan û tiþtê di zemîn de Xuda (ji her kêmasiyî) pak dêrandine. Serkeftiyê hîkmetdar her ew e.
2. 2Gelî ên bawerî anîne! hûn çima tiþtê nakin dibêjin?
3. 3Tiþtê hûn nekin bêjin li cem Xuda hêrsekî pirr mezin radike.
4. 4Bêguman Xuda ji ên ku di rêya wî de qor bi qor þer dikin ku ew her wekî avahiyekî biheve zeliqandî ne hiz dike.
5. 5(Di bîr bîne) dema Mûsa ji gelê xwe re got: "Gelê min! hûn çima min diêþînin tevî ku hûn baþ dizanin ku ez pêxemberê Xuda me bal we ve (hatime þandin?)." Vêca çi gava ew (ji rastiyê) fetilîn Xuda jî dilên wan fetiland. Xuda, komelekî ji rêderketî nade ser rêya rast.
6. 6Û (di bîr bîne) dema Îsa kurê Meryemê got: "Gelî zariyê Îsraîl! bêguman ez pêxemberê Xuda me bal we ve (hatime þandin) ku rastdêrê Tewrata berî xwe me û mizgînvanim bi pêxemberekî ku navê wî Ehmed e, wê piþtî min were." Vêca çi gava ew bi nîþanên xuya hat, gotin ku: "Evê han efsûneke diyar e."
7. 7Ji kesê derewa nebûyî davê ser Xuda tevî ku ew bal Îslamê ve tê vexwendinê sitemkartir kî heye? Xuda, komela sitemkaran nade ser rêya rast.
8. 8Ew dixwazin ku ronahiya Xuda bi devên xwe bitefînin. Lê her çend bi kafiran nexweþ be jî wê Xuda ronahiya xwe bitevayî bibe serî.
9. 9Ew e ê ku pêxemberê xwe bi rêberî û dînê rastîn þandiye ji bo ku wî her çend bi pûtperestan nexweþ be jî bi ser hemû dînan bixe.

10. 10Gelî ên bawerî anîne! ma ez danûsitanek ku we ji ezabekî bi jan xelas bike nîþanî we bidim.
11. 11Hûnê bi Xuda û pêxemberê wî bawerî bînin û hûnê bi malên xwe û bi canên xwe di rêya Xuda de cîhadê bikin. Eger hûn bizanbin evê han ji we re çêtir e.
12. 12Wê gunehên we ji we re bibexþîne û wê we têxe hin bihiþtên ku çem ji binê wan diherikin û hin ciyên xweþ di bihiþtê Ednê (ciyê xweþ û þên) de. Rizgariya herî mezin eva haye.
13. 13Yeka din jî ku hûn jê hiz dikin: yariyek ji Xuda û pîroziyek nêz. Tu mizgîn bide bawermendan.
14. 14Gelî ên bawerî anîne! hûn bibin alîkarê Xuda. Çewa ku Îsa kurê Meryemê ji þagirtan re got ku: "Bi alî Xuda ve kî alîkarê min e?" Þagirtan got: "Em alîkarê Xuda ne." Vêca ji zariyê Îsraîl destekî bawerî anî û destekî jî kafir bûn. Vêca me ên bawerî anîn li ser neyarên wan zeximand êdî ew bi ser ketin.

## Chapter 62 (Sura 62)

1. 1Tiþte di asîmana û tiþtê di zemîn de Xudayê þehînþahê pak pîrozê serkeftiyê hîkmetdar pak bêrî didêrin.
2. 2Ew e ê ku di nav nezanan de pêxemberek ji wan rakir-þand ku ayetên wî li ser wan dixweyne û wan pak dike û wan hînê kitêbê û hîkmetê dike; her çend ew berê di þaþiyek xuya de bûn.
3. 3Ji wan ên dinê re jî ku hê negihîþtine wan. Serkeftiyê hîkmetdar her ew e.
4. 4Evê han qenciya Xuda ye, ê bixwaze dide wî. Xuda xwey qenciyek mezin e.
5. 5Mînaka ên ku Tewrat li wan hatiye bar kirin paþê wan nikarbû wê hilgirin wek mînaka kerê ku barê kitêba hildigre ye. Mînaka ên ku ayetê Xuda derewandine çi nerind e! Xuda komela sitemkaran nade ser rêya rast.
6. 6Tu bêje: "Gelî ên bûne cihû! eger hûn guman dikin ku hûn bêyî mirovan bera dostê Xuda ne, nexwe hûn eger rastgo ne de ka mirinê bixwazin."
7. 7Ew, bi sedem tiþtê ku destên wan pêþ xistiye tu car wê naxwazin. Xuda, bi sitemkaran baþ zana ye.

8. 8Tu bêje ku: "Bêguman mirina ku hûn jê direvin, vêca bêguman ewê rastî we were, paþê hûnê bal (Xudayê) zanayê bi penhan û peyda ve bêne vegerandin vêca wê we bi tiþtê we kiriye haydar bike."
9. 9Gelî ên bawerî anîne! gava roja înê ji bo limêjê hat gazî kirin, êdî hûn herin bal zikrê (þîretê) Xuda û hûn dev ji danûsitanê berdin. Eger hûn bizanbin evê han ji we re çêtir e.
10. 10Vêca gava limêj hat pêk anîn, êdî hûn li rûyê zemîn belav bibin û ji qenciya Xuda bixwazin-bigerin û pirr Xuda di bîr bînin hêvî heye ku hûn xelas bibin.
11. 11Gava ew danûsitanek yan leystikek bibînin ew belav dibin-diçin balê û te li piya dihêlin . Tu bêje ku: "Tiþtê li cem Xuda ye ji leystik û danûsitanê çêtir e. Xuda çêtirê rozîdana ye."

## Chapter 63 (Sura 63)

1. 1Gava ên durû tên bal te dibêjin: "Em danasî didin ku bi rastî tu pêxemberê Xuda yî." Xuda baþ dizane ku tu pêxemberê wî yî. Xuda danasî dide ku bêguman ên gurû her derewkar in.
2. 2Wan baweriya xwe ji xwe re kir mertal vêca wan pêþî li rêya Xuda girt. Bêguman ew, çi pîs e tiþtê dikirin.
3. 3Evê han ji ber ku bi rastî wan bawerî anî paþê kafir bûn, vêca li ser dilên wan hate mohr kirin; êdî ew tênagihên.
4. 4Gava tu wan dibînî, bejn û bala wan te dixe sosretê, û eger ewbipeyivin tu li gotina wan gohdarî dikî. Ew her wekî hiþke darê sipartî ne. Ew her qerînî bi ser xwe ve guman dikin. Neyar her ew in, êdî tu xwe ji wan bigre-biparêze. Xuda wan bikuje!, ew bi ku ve têne zivirandin?
5. 5Û gava ji wan re tê gotin ku: "Werin ku pêxemberê Xuda ji we re bexþînê bixwaze" , ew serê xwe hey dihejînin û tu wan dibînî ku ew bu quretî li ba dikevinxwe ji para didin.
6. 6Çi tu ji wan re bexþînê nexwazî li ba wan yek e. Xuda ji wan re qet nabexþîne. Lewra bêguman Xuda komela jirêderketiyan nade ser rêya rast.

7. 7Ew in ên ku dibêjin: "Hûn tiþtekî nedin ên li cem pêxemberê Xuda ne heya ew ji hev belav dibin." Xiznê asîmana û zemîn her ê Xuda ne, lê belê ên durû tênagihên.
8. 8Ew dibêjin ku: "Sond be, egr em bal Medînê ve vegerin wê ê bêrûmet, jê derîne." Rûmet (û serkeftin) her a Xuda û pêxemberê wî û bawermendan e, lê belê ên durû nizanin.
9. 9Gelî ên bawerî anîne! ne malên we û ne zarûyên we bira we ji bîranîna Xuda para nehêle. Kî vî bike êdî ên ziyankar her ewên han in.
10. 10Û hûn ji tiþtê me rozî daye we bidin berî ku mirin ji we yekî re were vêca bêje: "Perwerdekare min! çima te min heya demek nêz nehiþt êdî ku ez sedeqa bidim û bibim ji qencan?"
11. 11Gava danê wî were, Xuda qet tu kesî para nade. Xuda bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.

## Chapter 64 (Sura 64)

1. 1Tiþtê di asimana û tiþtê di zemîn de her Xuda pak bêrî didêrin. Mulk ê wî ye. Pesn û sipas her jê re ne. Ew bi her tiþtî dikare.
2. 2Ew e ê ku we aferandiye; vêca hin ji we kafir in û hin ji we jî bawermend in. Xuda, tiþtê hûn dikin baþ dibîne.
3. 3Asîmana û zemîn bi rastitê aferandiye, û sikûm û rûçik bi we daye vêca sikûm û rûçikên we xweþik çêkiriye. Veger her bal wî ve ye.
4. 4Tiþtê di asîmana û zemîn de dizane û tiþtê hûn vediþêrin û tiþtê hûn diyar dikin jî dizane. Xuda zanayê bi veþariyê di singan de ye.
5. 5Ma xebera ên berê kafir bûne ji we re nehat ku wan sezayê karê xwe tam kirin. Ji wan re ezabekî bi jan jî heye.
6. 6Evê han ji ber ku bi rastî pêxemberên wan bi nîþanên xuya ji wan re hatin vêca wan got ku: "Ma wê mirovekî me bide ser rêya rast?" Vêca ew kafir bûn û rû zivirandin. Xuda (ji wan) bêhewce bû-tu paxevê bi wan nekir. Xuda devlemendê bêhewce hêjayê pesn e.
7. 7Ewên kafir bûne, guman kirin ku wê tu car (ji goran) neyên rakirin. Tu bêje ku: "Belê çewa (hûnê neyên rakirin); Bi perwerdekarê xwe kim hûnê her

bêne rakirin paþê hûnê bi kirinê xwe bêne haydar kirin. Evê han li ser Xuda pirr hêsan e."

8. 8Nexwe hûn bi Xuda û pêxemberê wî û ronahiya ku daxistiye bawerî bînin. Xuda bi tiþtê hûn dikin kûrzana ye.
9. 9Roja ku wê we ji bo roja civîne (roja qiyametê) bicivîne; ew (roja) han roja kar û ziyanê ye. Kî bi Xuda bawerî bîne û karê qenc bike, ewê nepakiyên wî jê bibe û wê wî têxe bihiþtên ku çem ji bînê wan diherikin, wê hertimî hertim tê de bimînin. Rizgariya mezin eva haye.
10. 10Ewên kafir bûne û ayetên me derewandine ehlê agir her ewên han in, wê hertimî tê de bimînin. Çi þûnvegerek ne rind e!
11. 11Her musîbeta çêbibe hey bi destûra Xuda ye. Kî bi Xuda bawerî bîne wê ew dilê wî bal rastiyê ve rêberî bike.Xuda zanayê bi her tiþtî ye.
12. 12Hûn peyrewtiya Xuda û peyrewtiya pêxember bikin. Vêca eger hûn rû bizivrînin êdî bêguman li ser pêxemberê me tenê daxuyandinek aþîkar heye.
13. 13Xuda,ji wî pêve tu Xuda nînin. Êdî bira bawermend her xwe bispêrin Xuda.
14. 14Gelî ên bawerî anîne! bêguman hin ji jinên we û zarûkên we ji we re neyar in; vêca hûn xwe ji wan biparêzin. Eger hûn lêbiborin û xweþ bibînin û bibexþînin, êdî bêguman Xuda bexþendekar e dilovan e.
15. 15Bêguman malên we û zarûyên we ji we re her sihêtî ne. Xuda li balê xelatekî mezin heye.
16. 16Vêca hûn biqasî dikarin xwe ji Xuda biparêzin-bitirsin û guhdarî bikin û peyrewtî bikin û ji xwe re qencî bikin. Kî ji çikûsî û timatiya xwe bê parastin êdî ên rizgarbûyî her ewên han in.
17. 17Eger hûn deynekî rind bi deyndarî bidin Xuda ewê wî ji we re pirrtir bike û ji we re bibexþîne. Xuda sipaskar e mulayim e.
18. 18Zanayê bi penhan û peyda ye serkeftiyê hîkmetdar e.

## Chapter 65 (Sura 65)

1. 1Pêxember! gava we jina berda, vêca hûn wan di danê (paqijiya) wan de berdin û hûn wî danî bijmêrin. Hûn xwe ji Xudayê perwerdekarê xwe

biparêzin-bitirsin. Hûn wan ji xaniyên wan dernexin û bira ew jî dernekevin ji pêþtirê ku nepakîkî aþîkar bikin. Evê han tixûbê Xuda ne. Kî ji tixûbê Xuda bibore êdî bi rastî wî li xwe tadê kiriye. Tu nizanî dibe ku Xuda piþtî vî kareki nû çê bike (rewþekî nû bi ber we xe).

2. 2Vêca gava ew (jin) gihîþtin danê (berdana) xwe, êdî hûn ji wan ya bi qencî bigrin yan jî hûn wan bi qencî biqetînin û hûn ji xwe du danasê dadmend (adil) amade kin. Hûn ji bo Xuda danasiyê rast kin. Evê han ê ku bi Xuda û roja dawîn bawerî tîne pê tê þîret kirin. Kî xwe ji Xuda biparêze-jê bitirse wê jê re rêya derketinê çêke.
3. 3Û wê ji deverekî ku ew guman nake rozî bidê. Kî xwe bispêre Xuda, êdî ew besî wî ye. Bêguman Xuda fermana xwe radigihîne (tiþtê bixwaze pêk tîne). Bi rastî Xuda, ji her tiþtî re pîvanek (qasekîdanê dawî lêhatine) çêkiriye.
4. 4Ew (pîre jin) ên ku ji kirasa bêhêvî bûne (êdî nakevin heyza) -eger hûn dudilî bibin- êdî danê (mayîna) wan sê meh e; û ên ku (biçûk in) neketine kirasa de jî (danê mayina wan sê meh e; jin) ên bardar (bi hemle) jî danê wan (ev e) ku barê xwe deynin. Kî, xwe ji Xuda biparêze-bitirse, wê ji karê wî jê re hêsanî çêke.
5. 5Evê han fermana Xuda ye ku bal we ve daxistiye. Kî xwe ji Xuda biparêze-bitirse wê nepakiyên wî jê bibe û wê xelata wî jê re mezin bidêre.
6. 6Hûn li kuder bimînin hûn wan (jinên berdayî) jî li wê der bi qasî maldariya xwe bihêlin, û hûn ji bo ku li ser wan tengasî çêkin, ziyanê nedin wan. Eger ew (jin) bardar bin, êdî hûn heya ew barê xwe deynin (rozî) bidin. Vêca eger ew (zarûyên we) ji we re bimêjînin, êdî hûn destmuza wan bidin wan, û hûn bi qencî dinav xwe de lihev bikin. Eger ji we re zor hat, êdî wê yeka din wî bimêjîne.
7. 7Bira ê xwedan firehî (maldar) ji firehiya xwe bide. Kî jî roziya wî jê re teng hatiye kirin, êdî bira ew ji tiþtê Xuda dayê bide. Xuda, her kesî bi qasî tiþtê dayê berpirsyar digre. Wê Xuda, piþtî dengasiyê firehî çêbike.
8. 8Çiqas ji bajaran ku ji fermana perwerdekarê xwe û pêxemberên wî serkêþî kirin vêca me wan bi pirsek zor dijwar berpirsyar girt û me wanbi ezabekî nedîtî da ezabê.
9. 9Vêca wan celata karê xwe tam kir û paþiya karê wan bû ziyan.

10. 10Xuda, ji wan re ezabeki zor dijwar amade kiriye. Nexwe hûn xwe ji Xuda biparêzin-bitirsin - gelî xwedan hiþên ku we bawerî aniye! - Bi rastî Xuda bal we ve Qur´anekî (ku tev pend û þîret e) daxistiye.
11. 11Pêxemberekî ku ayetên Xuda eþkere li ser we dixweyne ji bo ku ew, ên bawerî anîne û karên qenc kirine ji tarîtiyan bal ronahiyê ve derîne. Kî bi Xuda bawerî bîne û karê qenc bike, wê wî têxe hin bihiþtên ku çem ji binê wan diherikin, wê hertimî hertim tê de bin. Bi rastî Xuda, jê re roziyê rind çêkiriye.
12. 12Xuda ye ê ku heft asîmana û biqasî wan zemîn aferandiye. Kar û ferman di nava wan de hin bi hin dadikeve ji bo hûn bizanbin ku bêguman Xuda bi her tiþti dikare û bêguman Xuda bi zanînê hawîdor li her tiþtî girtiye.

## Chapter 66 (Sura 66)

1. 1Pêxember! tu çima tiþtê Xuda ji te re rewa dêraye tu ji bûna qayilbûna jinên xwe nerewa didêrî? Xuda bexþendekar e dilovan e.
2. 2Bi rastî Xuda, ji we re vekirina sondên we (bi dana bergîdana) daxuyandiye. Xuda yar û yawerê we ye. Zanayê hikmetdar her ew e.
3. 3Dema pêxamber ji hin jinên xwe re gotinek bi dizî got; vêca çi gava wê wî (razî ji jinên din re) got, û Xuda jî haya wî pê xist, wî hinekî wî (razî) nasî û ji hinekî wî jî rû zivirand. Vêca çi gava wî wê pê (bi belavkirina razê wî) haydar kir (jina wî) gotê: "Kî te bi vî haydar kir?" Got: "(Xudayê) zanayê haydar min pê haydar kir."
4. 4(Hûn herdû jinên pêxember ku we gotinê wî yê bi dizî belav kiriye) eger hûn bal Xuda ve poþman bibin-vegerin êdî bi rastî dilê we (ji rastiyê) xor bûye-ziviriye û eger hûn li serê piþtvaniya hevdû bikin, êdî bêguman yar û yawerê wî her Xuda û Cebraîl û qencê bawermendan e. Piþtî vî feriþte jî piþtvan in.
5. 5Eger ew we berde, dibe perwerdekarê wî di þûna we de hin jinên ji we çêtir bidê ku musilmanê bawermendê ji dil pê girtiyê tobedarê perestvanê rojîdarê (yan koçberê) jinebî û keç bin.

6. 6Gelî ên bawerî anîne! hûn xwe û maliyên xwe ji agirê ku þewata wî mirov û kevir in biparêzin. Li serê hin feriþtê sirt û dijwar hene ku tiþtê Xuda ji wan re ferman bike ew bêemriya wî nakin û tiþtê têne ferman kirin dikin.
7. 7Gelî en kafir bûne! hûn îro doza lêborînê nekin. Lewra bêguman hûn, her bi tiþtê we kiriye têne celat kirin.
8. 8Gelî ên bawerî anîne! hûn bi poþmaniyek vebirrî bal Xuda ve poþman bibin-vegerin. Dibe ku perwerdekarê we nepakiyên we ji we bibe û we têxe hin bihiþtên ku çem ji binê wan diherikin; di roja ku wê Xuda, pêxember û ên pê re bawerî anîne riswa neke. Ronahiya wan li pêþiya wan û li rastê wan rohnî dike; ew dibêjin ku: "Perwerdekarê me! tu ronahiya me ji me re bi tevayî pêk bîne û tu ji me re bibexþîne. Bêguman tu bi her tiþtî dikarî."þ
9. 9Pêxember! tu bi kafir û durûyan re cîhadê bike û li ser wan sirtî nîþan de. Hewyegeha wan dojeh e. Çi þûnvegerek ne rind e!
10. 10Xuda, ji ên kafir bûne re pîreka Nûh û pîreka Lût mînak da ku ew herdû di binê du bende yên qenc ji bendeyên me de bûn, vêca wan (du jina) bi her du (bendeyên me re) dexesî kir, êdî li hember Xuda tu tiþt bikêra wan nehat, û hat gotin ku: "Hûn jî tevlî ketiyan têkevin agir."
11. 11Û Xuda, ji ên bawerî anîne re pîreka Fîr´ewn mînak da; dema ku got: "Perwerdekarê min! tu ji min re li cem xwe xanîkî di bihiþtê de ava ke û min ji Fîr´ewn û karê wî xelas ke û min ji komela sitemkaran rizgar bike."
12. 12Û Meryam keça Îmran (minak da) a ku dawa xwe parast, vêca me ji canê xwe tê pîf kir û wê peyvê perwerdekarê xwe û kitêbên wî rast dêrand û bû ji ên bi dil perestvan in.

## Chapter 67 (Sura 67)

1. 1Ew (Yezdan ê ) ku (serektîya hemî berewan û bûyeran ) di destê wî dane, pîroz e. Û ewa bi xweber jî li ser hemî tiştan bi hêz e.
2. 2Ji bo ku ewa we bi ceribûn e; ka kîjan ji we karekî rindtir dike ewî mirin û jîn afirandî ye. Şixwa ewa bi xweber jî servahatê baxişkar e.
3. 3Ewî ezman bi heft ramaxê (wekîhev) afirandî ye (heryekê ji wan di şopa xwe da digere). Tu di afirandîna ( Yezdan ê ) dilovan da qe to alozîyê nabînî. Îdî tu çav bizvirîn e, ka qe tu (di afirandina wan da) tu alozîyekî di bînî?

4. 4Paşê tu bi car û car çav bizvirîne qe tu (tu alozî nabînî). Ewan çavanê bi bêzarî (ji dîtina kêmaî û alozîyan) bê umîd wê li bal te da bizvirin.
5. 5Bi sond ! me ezmanê cihanê bi sitêrkne wekî çiran çilwulok xemilandî ye. Me ewan sitêrkan ji bona Pelîdan xistin e kevir afîtok (sitêrkê rijok e). Me ji bona (Pelîdan ra) şapata doja hilopît amade kirîye.
6. 6Me ji bona wanê ku filetî ya Xuda yê xwe dikin şapata dojê (amade kirîye). Ewa çiqa sikê êwran e !
7. 7Gava ewan di nava dojê da têne afîtinê, ewan ji dojê dengê zîqînîyê di behên (tu dibê qey ji hizkirina afîtinê) di hîre û ewa li sed hev da pêt davêj e.
8. 8Nêzîk dibe ku (ewa doja) ji hêrsa ji hev bi çire. Çiqa destek ji wan di nava (dojê da) têne afîtinê, zebanîyê (dojê) ji wan pirs kirîye, « Qe ji bona ew ra hişyarvanekî, ku (hûn ji vê dojê bi dana tirsandinê ) ne hatibû bal we ? »
9. 9Ewan (aha pisyar dane û) gotine, « erê ! bi sond, li bal me da hişyarvan hatibûn, lê me ewan dane derew dêrandinê, me ji wan ra (aha) gotibû, « Yezdan qe tu tişt ne hinartîye, hûn hey di wundabûneke mezin danin. »
10. 10(aha jî) gotibûne, « Şixwa heke me ji wan (hişyrvanan) bi bihîsta û me (ji gotinê wan) hiş hilda, em ne diketine nava hevrîne (agirê) hilopît. »
11. 11Îdî ewan (bi vênevê gotine), « erê ! me (evan gunehê hanênan) kirine. Îdî (tu dest ji wan berde) bi ra hevalê wî (agirê) hilopît bêne hêrandinê, dûr e (dilovanî ya Yezdan bi kebin).
12. 12Bi rastî ewanê, ku bi dizîka da ji Xuda yê xwe ditirsin hene ! ji bona wan ra baxişkirin û kiryeke mezin heye.
13. 13Hûn (gelî merivan !) axiftinan, çi veşêrin û çi eşkerke bikin (yek e). Loma tişta di singa da heye (Yezdan) pur pê dizane.
14. 14Ewa bi xweber bi hemî tiştê hûr (dizane û ) agahdar e, ça bi tişta (afirandîye)nizane ?
15. 15Ewê, ku zemîn ji bona we ra melûl kirîye heye ! ewa Yezdan e, îdî hûn di nav milê (zemîn da) bigerin û hûn ji rojîne wî bixun. Hey zivirandin li bal (Yezdan) dane.
16. 16Qey hûn ji wanê di ezmana da ewle dibin, ku ewan we di zemîn da nexne xarê? Gava (evan bi vên, ku we di zemîn da bixne xarê) zemîn heman diheje (hûn bixweber di zemîn da diçine xarê).

17.17Yajî qeyy hûn ji wanê di zemîn da hene ewle dibin, ku ewan li ser we da bexûrê neşînin? Di nava wê baxûrê da kevirne, ku hûn bi wan bêne kuştinê hebin. Îdî hûnê di nêzîk da bizanin ka hîşyar ya mine bi tirsdanê, çane ?
18.18Bi sond! Ewanê di berya wan da hebûne, hene ! ewan jî (Pêxemberne xwe) dabûne derewdêrandinê, îdî (tu mize bike) ka temtêla wanê,ku (digotin, Xuda) tuneye çane?
19.19Maqey ewan li bal wan çûkne, ku li ser wan da ref girtine û baskê xwe diweşînin û req dikin, mêze nakin? Ewan (çûkan) di hewa da hey (Yezdan ê) dilovan digire. Loma bi rastî ewa hemî tiştîdibîne.
20.20Qey ji pêştirê (Yezdan ê) dilovan, evan leşkerne wene hanênan wê we (ji şapata Yezdan) biparisînin? Bi rastî file di xapandinêdanin.
21.21Qey heke(Yezdan) rojîna xwe ji we bide girtinê, evanê hanê wê ji we ra rojînan bidin? (Tu kes nikare bide!) lê ewan di înça xwe da tekoşînê dikin û (ji rastîyê) vedicinikin.
22.22Maqey ewê, ku deverû diçe, ewa li ser rîyaraste yan jî ewê li ser rîyarast diçe hatîye rîyarast?
23.23(Muhemmed! Tu ji bona wan ra aha) bêje: “Ewê hûn afirindine heye! Ewa Yezdan e. Ewî ji bona we ra goh û çav û dil çêkirîye. Hûn çiqa hindik sipasî ya (wî) dikin!“
24.24(Muhemmed! Tu ji bona wan ra aha jî) bêje: “ewê hûn di zemîn da çandine heye! Ewa (Yezdan e) hûnê li bal wî da bêne civandinê.“
25.25Ewan ji te (aha dipirsin) û dibêjin: “heke hûn rastbêjin, ka danê wê (şapatê) kîngeye?“
26.26Tu (pisyara wan aha bide) û bêje: “ zanîna wî danî hey li bal Yezdan e. Ez bi xweber jî hey hişyardarekî xwuyame.“
27.27Îdî gava ewan (nabaweran) ewa (aşîta) di nêzîk da dîtine, rûyê wanê bûne file sikbûya (ji wan ra aha) hatîye gotinê: “ewa şapata we dixwest evaye.“
28.28(Muhemmed! Tu ji bona wan ra aha) bêje: “hûn mêze bikin, heke Yezdan min û ewanê bi min ra teşqele bike, yan jî dilovanî ya xwe li me bike (em bi xweber qayîlin loma ewa Xuda yê me ye, lê gelo) îdî kê dikare filan ji şapata dilsoz biparêsîne?“

29. 29(Muhemmed! Tu ji bona wan ra aha jî) bêje: “parisvan hey (Yezdan ê) dilovan e, me bi wî bawer kirîyeû me xwe hispartîye wî, îdî hûnê di nêzîk da bizanin ka kîjan di rê wundabûna xûyadane.“
30. 30Tu (ji wan ra aha jî) bêje: “hûn mêze bikin; heke ava we di (zemîn da) here xarê û bimirçiqe, îdî gelo ji we ra kîjan dikare aveke nexwuyaî bide zayînê bîne?“

## Chapter 68 (Sura 68)

1. 1Nûn. (Arşa van tîpên di serê ferkeran da hatine hey Yezdan dizane) Bi nûn û nivîsdarok û bi nivîsandina, ku (bi nivîsdarokê) tê rêz kirinê.
2. 2(Muhemmed!) tu bi qencîneke Xuda yê xwe tepa nakebî.
3. 3Bi rastî ji bona te ra kiryeke bê paşî heye.
4. 4Bi rastî tu li ser xûyekî mezinî.
5. 5Îdî tuyê jî (di nêzîk da) bibînî ewanê jî, bibînin.
6. 6Ka kîjan ji we (herdu destan ji rêya rast) darketîye (tepa ketîye).
7. 7Bi rastî Xuda yê te bi xweber ça bi wanê hatine (rîyarast) çêtir dizan e, bi wanê, ku ji rêya wî der- ketine jî çêtir dizan e.
8. 8Îdî (Muhemmed!) tu bigotina virekan nek e.
9. 9Ewan hiz kirine, ku tu bi wan ra bi nermayî derbas bikî, îdî ewan jî bi wa ra bi nermayî derbas bikin (carna tu bi gotina wan, carna jî ewan bi gotina te bikin)
10. 10(Muhemmed!) hemî (kesên) sond xwarin e riswa
11. 11Gotegotê bi navok (di nava kesan da) axiftinan digerîn e.
12. 12Nahêle (kes) qencîyan bike, ji tuxûbê xwe borî û gonehkar.
13. 13Ku bi hêrs in ji piştî hêrsê jî bê nişan e.
14. 14Ji ber ku bi mal û kur in, tu bi gotina (wan) neke. Loma, ewan ji tuxûbê xwe borîne rast nînin).
15. 15Gava berateyên me ji wî ra tê xwundinê (aha) dibêje,"Evanan çîvanokê berêne."
16. 16Di nêzîk da emê li ser pozê wî durufê daynin.
17. 17Bi rastî me ça hevrîne rêz û baxan ceribandibûn. Kanê wan sond xaribûn, ku ewanê di serê sibehê da (darê bostanê xwe biweşînin).

18. 18Qey ewan tu tişt ji hev venediqetandin (ne digotin: Heke Xuda hez bike).
19. 19Îdî ewan bi xweber jî hêj razaîbûne li ser wan da aşîtek ji Xuda yê te çerixî.
20. 20Îdî rêz û baxê wan wekî pirêzên zevîyan man e.
21. 21Ewan di sibehê da qîrdane hev.
22. 22Ku hûnê herin (daran) daweşînin; zû herin hûn dereng man e, gotine.
23. 23Îdî ewan rabûne çûne, di nava hev da bi dizî axiftin e.
24. 24Di îro da bila tu xezan (di rêz û baxçe da) neyê bal me.
25. 25Ewan zû çûn. Guman dikirin, ku dişîn qe tu xezanî nexne baxçê xwe.
26. 26Îdî gava ewan çûne (bostanê xwe) dîtine (aha) gotine: "Bi rastî me rêya rast wuda kirîye".
27. 27Bi rastî em di berê da ji wî (bostanî) hatine bê par kirinê
28. 28Ewê nîvwarê ji wan (ji bona wan ra aha) gotîye: "Qey min ji bona we ra negot; gotî hûn Xuda yê xwe ji kêmasîyan paqij bikin
29. 29Ewan jî (aha) gotine; "Xuda yê me! bi rastî em te ji kemasîyan paqij dikin, loma bi rastî em ji cewrkaran bûne.
30. 30Îdî hinekê ji wan berê xwe dane hinekên wan li hev tilf kirine.
31. 31(Ji hev ra aha) aha gotina, "Xwalî li me be! bi rastî em ji avarû derketibûn".
32. 32Dibe ku Xuda yê me di şûna wan da ji wan çêtir bide me. Loma bi rastî em ji Xuda yê xwe hêj ji wan çêtir dixwazin.
33. 33Şapat ahane! heke ewan bizanin şapata para da hêj meztir e.
34. 34Bi rastî ji bona Xuda parizan, li bal Xuda yê wan, behişta xarinan heye.
35. 35Îdî qe em misilmanan û guneh karan wekî hev digirin?
36. 36(Gelî filan!) hûn ça berewanî dikin (ewan wekî hev digirin)?
37. 37Qey ji bona we ra pirtûkek heye! hûn (di wê pirtûkê da) evan biryaran dixûnin?
38. 38Bi rastî hûn çi bibêjin, ji bona we ra di wê pirtûkê da heye?
39. 39Maqey heya roya qarsê ji bona we ra me sond xwarîye, ku hûn bi çi berewanî bikin, ewa berewanî ya ji bona we ra heye?
40. 40(Muhemmed! tu ji wan aha) pirs bike, ka ji wan kîjan dibe gerewa vê gotinê?

41.41Qey Ji bona wan ra (divê axiftinê da) hempayê wan hene? Îdî heke ewan (di doza xwe da) rast in, bila hempayê xwe jî bînin.
42.42Di roya, ku deling ji bazûyan tê hildanê (temtêla wan zor dibe) ewan li bal kunde birinê da têne gazî kirinê, îdî ewan nikarin kunde beherin (loma danê wî borîye).
43.43Çavê wan ji tirsa ketîye, rûreşîk bi wan digirtîye. Bi sond! Ewan hêj zende bûne, li bal kunde birinê da hatine gazî kirinê (lê kude ne birine).
44.44Îdî (Muhemmed!) tu ewanê, ku vê (Qur´an ê) didine derewdêrandinê ji min ra bihêle (dest ji wan berde) emê ewn bi pêpelîk di wî cîyî qe ewan pê nizanbin nêzîkê (aşîtê) bikin.
45.45Ez ji bona wan ra dem didim. Bi rastî defika min (ji bona wan ra ) bi hêz e, (kê bikeve îdî dernakeve).
46.46Qey (Muhemmed!) tu ji wan kirya (pêxembrî ya xwe) dixwazî, îdî ewan jî, ji deyn dayînê giran bûne (nikarin kirya te bidin?).
47.47Qey li bal wan (xezîna bi ne xûyan) heye, îdî ewan jî, (ji wan ne xûyan) dinivîsin?
48.48Îdî tu ji bona berewani ya Xuda yê xwe hew bike û tu jî wek hevrîyê masîyê (Yunis) neke. Gava (Yunis) ji kulan tijî bûye (ji Xuda) lava kirîye.
49.49Heke ji Xuda yê wî qencîyek negîhişta wi, wê di çoleke rût da bi rexnî bihata avêtinê.
50.50Îdî (wusa nebû) loma Xuda yê wî (lava ya wî) litê kir. Îdî (Xuda yê wî) ewa xiste ji aştîkaran.
51.51Ewanê bûne file hane! Gava ewan (xwendina Qur´an ê) dibihîstin, nêzîk dibû, ku ewan te bi çavê xwe welgerînin. Ewan (aha) digotin: "bi rastî (Muhemmed) tepa dikebe".
52.52Lê (Qur´an) bi xweber jî, ji bona hemû heyan şîretk e (hatîye şandinê)

## Chapter 69 (Sura 69)

1. 1Maf (bi rastî di roja qarsê da) ne.
2. 2(Roja) qarsê çîye?
3. 3Ka çi tişt e bi te daye zanînê(roja) qarsê çîye?
4. 4Semûdîyan û Adîyan (danê) qarsê (dan e) derewdêrandinê.

5. 5Îdî Semûdî bi sedema ku ji avarû derketibûn, hatine teşqele kirinê.
6. 6Lê Adîyan bi babelîzkeke bi denge zor hişk hatine teşqele kirinê.
7. 7(Yezdan ewa baya) bi ser wan da hevt şev û hevt rojan bi peywestî anîye, îdî te digo qey ewa komala di nava wî baî da bi xwe va çûne, wekî çiqilê darê xurm kefikî, diketin
8. 8Îdî qe tu ji wan para maîyan dibnî?
9. 9Fir´ewn û ewanê berya (Fir"ewn jî) û (komalê) bajarê kavil bûne, bi xeletîne xwe va hatine.
10. 10Îdî ewan bê gotina qasidê Xuda yê xwe kirine, îdî (Xuda yê wan jî, ewnan) bi şapateke mezin (dane şapat) kirinê.
11. 11Bi rastî gava av rabû ye, me hûn hildane kêleka kişyaî da.
12. 12Ji bo ku guhekî vala ewî bi xweber bi parisîne, me ji we ra xistîye şîreteke (sodret).
13. 13Îdî gava di sturî da bi carekî tenê tê puf kirinê.
14. 14Û zemin û çîyan tene rakirinê, bi yek carekî û hev dikevin.
15. 15Îdî bûyera qarsê di wê royê dan e.
16. 16Îdî ezman di wê rojê da çirîye; hatîye daweşandinê.
17. 17Û ferişten jî li ser lêvê ezman in. Şixwa di wê rojê da arşê Xuda yê te heşt (ferişte) hil didin.
18. 18Di wê rojê da hûn (ji bona Yezdan ra) têne raber kirinê, ji we tu veşartî ji (Xuda) penha namînin.
19. 19Îdî ji bona kîjanî ra pirtûka wî bi destê rastê hatibe dayînê (aha) dibêje: "Ka pirtûka min bi xwûnin (hemî qencîne)."
20. 20Loma bi rastî min guman kiribû, ku ezê rastê vê hijmarê wer im.
21. 21Îdî ewa di jîneke pê qayîl dan e.
22. 22Di behişteke bilind dan e.
23. 23Guşîne (darê) wê nêzîk in.
24. 24Bi sedema (wan karên qencîne) ku we di wan rojê borî da (pêş da kirîye) îdî hûn bixun û vexun; li we bigivir e.
25. 25Lê ewê, ku pirtûka wî bi destê çepê ji wî ra hatîye dayînê; îdî (aha) dibêje: "Xwezîka ji bona min ra pirtûk ne hatibû ya dayînê."
26. 26Min bi hijmara (kirinê) xwe nizanbû ya.
27. 27Xwezîka (mirina min) pêk hatibû ya (min evan ne dîtibûnan).

28.28Qe malê min bi kêrê min nehat (evan şapatan dûrê min ne xistin).
29.29Hêz û seroktî ya min çû(qe tu kar nekir).
30.30(Yezdan ji bona nobedarê dojê ra aha) dibêje: "hûn ewî li bal dojê da bavêj in."
31.31
32.32Paşê hûnê wî di zincîrê; ku pîletê wî hevtê zend in, beherin.
33.33Loma ewî bi Yezdan ê mezin bawer ne dikir.
34.34Ji bona daxwurinan belengazan qe helan ne dida tu kesî.
35.35Îdî di îro da ji bona wî ra di vira da qe tu pismam tuneye.
36.36Ji pêştirê kêmê, qe tu xwurin jî tuneye.
37.37Ji pêştirê gunehkaran, qe tu kes (ewê xwurinê ) naxun.
38.38Ho! Ez bi wan tiştên, ku hûn ewan dibînin.
39.39Bi wan tiştên, ku hûn ewan nabînin.
40.40Sond dixum! Ku ewa (Qur´an a) bi rastî peyva (Xuda ye) qasidê (Yezdan ê) dilşa anîye.
41.41Ewa (Qur´an a) gotina bengîyekî nîne. Hûn çiqa hindik bawer dikin!
42.42Ewa (Qur´an a) gotina fal zanan jî, nîne. Hûn çiqa hindik diponijin.
43.43Lê ewa hey hînartineke ji Xuda yê cîhanê ye.
44.44Heke ewî (qasidî) li ser navê me hinek gotin, aloze kirîbû ya.
45.45Bi rastî meyê ji wî hêza wî hildabû ya.
46.46Paşê meyê temarê canê wî jêkira.
47.47Îdî tu kesî ji we nikaribû, ji wî (qasidî) eva şapata bida para da.
48.48Bi rastî ewa (Qur´an a) ji bona Xudaparizan şîretek e.
49.49Bi rastî me dizanî ya, ku hinekne ji we ewê didine derewdêrandinê.
50.50Bi rastî eva li ser filan kovanek e.
51.51Loma bi rastî ewa mafekî bê dudil e.
52.52Îdî (Muhemmed!) tu navê Xuda yê xweî mezin bi perestî paqijiyan bike.

## Chapter 70 (Sura 70)

1. 1Yekê pirsa wê şapata (bi serê wan da) tê, kirîye.
2. 2(Gava eva şapata were) ji bona filan ra qe tu parisvan tuneye.
3. 3Ewa (şapata) ji Yezdan ê xwedîyê pay e.

4. 4Ferişten û can di royeke wekî pêncî hezar sal dirêj (li bal Yezdan da) bilind dibin.
5. 5Îdî (Muhemmed! Tu di hemberê wan da) rind hev bike.
6. 6Loma bi rastî ewan (ewê aşîtê) dûr dibînin.
7. 7Lê em jî, ewê nêzîk dibînin.
8. 8Di wê rojê da ezman wekî sifrê bahatî dibe.
9. 9Çîyan jî, wekî hirî ya jenî dibe.
10. 10Tu pismamek (ji temtêla) pismaman napirs e.
11. 11Ewan (gunehkaran) hevdu didine nîşanê hev (lê her kes ketîye derdê xwe, hevdu ne nîyasin) di wê rojê da nusîtemkar hez dike, heke ji wê şapatê ferişte bibe, zarê xwe ji bona xwe ra bixe gerew.
12. 12Hevalê xweyê (jînê) û birayê xwe jî.
13. 13Ewan malîne, ku di nava wan da jî ye û di nava wan da mezin bûye hemû.
14. 14Û hemû heyîne di zemîn da (di gerewa xwe da) bide, hey bi tenê fereste be.
15. 15Na! (ewa fereste nabe) lê bi rastî ewa agirê hilopît e.
16. 16Bi sedema bahatinê çermê (wan) diçirîn e.
17. 17(Ewa agira) gazî wanê jê rev û paş da çûyan (hemûyan) dike.
18. 18Ewî mal berav kirîye, îdî qe ji bona xezana ra nedaye.
19. 19Bi rastî meriv, tirsonek û bê zar hatîye afirandinê.
20. 20Gava sikatîk pê da were, zarîn dike.
21. 21Gava qencîyek pê da were, (ji hewcan ra nade) hişk digire.
22. 22Ji pêştirê wanê nimêjker.
23. 23Ewan (nimêjkeran) li ser nimêj kirina xwe peywestene.
24. 24Di malê wan da (ji bona wan ra) pareke xwuyaî heye.
25. 25Ji bona xwastî û ne xwastîyan ra.
26. 26(Ewan nimêjkeran) roja xelat û celatan rast didêrînin.
27. 27Ewanan ji şapata Xuda yê xwe disilikînin.
28. 28Loma bi rastî şapata Xuda yê wan, ewletî çê nabe.
29. 29Ewan ji bona doxîna xwe ra parisvan in.
30. 30Ji pêştirê zo û yan jî (hevala) bi ked û malê xwe hildaye binê destê xwe, îdî (doxîn vekirin) ji bona van herduyan ra jî bi tilf e.
31. 31Îdî kîjan ji van pêştir bivê, ewanan îdî ji tuxûb diborin.

32. 32Ewanê (nimêjker) emanet (hildane paradan-ragirtin bo danewe) û peymana xwe pêk tînin.
33. 33Ewana nihrewanî ya xwe pêk tînin (qe venaşerin).
34. 34Ewanan bi xweber jî,parisvanê nimêja xwe ne.
35. 35Ewanan di behiştan da bi mexzûvanî rûmetkar in.
36. 36Îdî gelo ji bona wanê file ra çibûye, sitûyê xwe dirêj kirine li bal te da direnin.
37. 37Ji rast û çep da destê deste tên.
38. 38Qey her yek ji divên, ku bikevine behişta xarinan?
39. 39Na! (tiştekî wusa tuneye) bi rastî me ewan ji wê (ava) ku pê dizanin afirandîye.
40. 40Ho! Îdî bi Xuda yê rojhilat û rojava sond dixum, ku em bi şîn e.
41. 41Em dikarin di şûna wan da (mirovên) ji çêtir bînin, qe ewan nikarin pêşîya me bigirin (ku em di şûna wan da ji wan çêtir neynin).
42. 42Îdî (Muhemmed!) tu dest ji wan berde, bila ewan heya wê rojê, ku ji wan ra hatîye peymandanê noqî tinaz û leyîstika bin.
43. 43Di wê rojê da ewan ji gora xwe li lez derdikevin, tu dibê qey li bal kêlê xwene çikandî da direvin.
44. 44Çavê wan ji (riswabûnê) berjêr ketine, alotîyê ewan som kirîye. Ewa roja, ku ji bona wan ra hatîye peymandinê, eva ye.

## Chapter 71 (Sura 71)

1. 1Bi rastî me Nûh li bal koma wî da şandîye (me ji Nûh ra aha gotîye: "Nûh!) hêj di berîya, ku ji komalê te ra şapateke dilsoz ne hatîye; tu komalê xwe bide hişyar kirinê".
2. 2(Nûh ji bona wan ra aha) gotîye: "gelî min! bi rastî ez ji bona we ra hişyarvanekî xûyame".
3. 3Hûn perestî ya Yezdan bikin û bi gotina min bikin.
4. 4(Heke hûn aha bikin. Yezdan ê) hinekî ji gunehên we ji bona we ra bibexşîne û wê ewayê heya danê nevdaî we para da bihile. Bi rastî heke hûn bizanin; gava danê dawîyê hatibe, nayê paradanê.

5. 5(Nûh ji Xuda aha lava kirîye û) gotîye: " Xuda yê min! bi rastî min komalê xwe di şev û rojê da (li bal te da) gazî kirîye".
6. 6Îdî gazîkirina min ji wan ra hey revandina wan para da pir kiriye.
7. 7Bi rastî ji bo ku tu ewan bibexşînî, min çiqa gazî wan kirîye ewan kincên xwe li xwe dipêçandin û tiliyê xwe dixistine guhê xwe (ji bo ku deng neçe wan înç dikirin, ji quratîyê xwe mezin dikirin..
8. 8Paşê bi rastî min ewan bi eşkere gazî kirin (ku ji kirinê xwe poşman bibin).
9. 9Paşê bi rastî min, ji bona wan ra (doza xwe) eşkere kir, ça min ji bona wan ra (doza xwe) bi veşartî penha kiribû.
10. 10Îdî minji wan ra (aha) got: "hûn ji bona xwe ra ji Xuda yê xwe baxişandina xwe lava bikin. Loma bi rastî (Xuda yê we) baxişkar e.
11. 11(Hûn jî wî baxişandinê bixwazin) ji bo ku di jor da li ser we da baranê bişîne!
12. 12Ji bo ku ewa (berxudar ya we) bi mala û zaran pir bike, ji bona we ra bostan ş çeman çê bike.
13. 13(Gelî min!) ji bona we ra çi bûye; ku hûn bi kubarî gazî Yezdan nakin?
14. 14Ewî bi xweber jî hûn ji temtêlne curecure da afirandine (qey hûn naponijin).
15. 15Maqey hûn nabînin, Yezdan ça hevt ezman wekî hev afirandîye?
16. 16(Yezdan) hîv di wan (ezmanan da) xistîye rohnayî û roj jî xistîye çira.
17. 17Yezdan hîn ji zemîn (wekî çêre) hêşîn kirine.
18. 18Paşê wê dîsa we bixe zemîn, dîsa we ji zemîn derxe, carbicar aha bike.
19. 19Yezdan zemîn ji bona we ra xistîye binrax.
20. 20Ji bo ku hûn di rêne firene (di zemîn da) hatine vekirinê, bigerin.
21. 21Nûh (gava dêna xwe dayê ku şîretên wî ji bona komalê wî ra qe kêrê wan ne hatîye, ji Xuda yê xwe aha lava kirîye û) gotîye: "Xuda yê min! bi rastî ewan bê gotina min kirine û bûne peyrewê kesekê wusa, komal û zarê wî ji bona wî ra hey zîyana wî pir kirine".
22. 22Ewanan endezene mezin kirine.
23. 23(Ji hev ra) gotine: "hûn (gelî me! bi gotina Nûh) dest ji Xudan yên xwe bernedin û hûn dest (ji Xuda yê bi nav) Wed û Sewa û Yexûs û Ye´ûq û Nesir bernedin".

24.24Bi sond! ewan bi vî awayî pir kes ji rê ya rast derxistin e. Tu bi xweber jî ji bona cewrkaran hey teşqelan pir dikî.

25.25Ji ber dexelîne wan ewan (di avê da) feşirîn, îdî ketine agir. Ji bona wan ra ji peştirê Yezdan, îdî qe rastî tu arîkarî ne hatîye.

26.26Nûh (aha lava kirîye û) gotîye: "Xuda yê min! tu ji bona filan ra li ser zemîn qe tu welatê nehêle".

27.27(Xuda yê min!) bi rastî heke tu ewan (filan li ser zemîn) bihêlî, ewanê bendene te ji rê ya te derxin, ewanê hey filene bê xûne (cewrkar) bizêyînin.

28.28Xuda yê min! tu min û da û bavê min û ewanê bi bawerî dikevine xênîyê min û mer û jinê bawer kirine bibexşînî. (Xuda!) tu ji bona cewrkaran ra hey teşqelê pir bike

## Chapter 72 (Sura 72)

1. 1(Muhammed! tu ji bona wan ra aha) bêje: "bi rastî li bal min da hatîye niqandinê, ku çend nijdewanê ji cunûkan eva (Qu´ran a) guhdarî kirine û paşê ji hev ra (aha) gotine: "Bi rastî me guhdarî ya Qu´ran-eke sodret kirîye.
2. 2Ewa (Qu´ran a) beledî ya rê ya rast dike, îdî me jî bi wê (Qu´ran ê) bawer kir. Îdî em tu kesî naxne hempaê Xuda yê xwe.
3. 3Bi rastî temtêla Xuda yê me ji her kemasîyan paqij e (Xuda yê me) qe ji bona xwe ra tu hevalê jînê zar ne girtine.
4. 4Bi rastî nezan û evsenene me di hemberê Yezdan da mijûlîne necê dibêjin.
5. 5Bi rastî me guman dikir, ku meriv û cunûk li ser (navê) Yezdan derewan nakin.
6. 6Bi rastî mêrne ji merivan hane! xwe diavîtne berbextê mêrne ji cunûkan, îdî meçetiran jî xwe pir qure dikirin.
7. 7Bi rastî (cunûkan jî) wekî we guman dikirin, ku Yezdan tu kesî (ji piştî mirinê) ranake naşîn civîne.
8. 8Bi rastî me destê xwe da ezmana; me (dêna) xwe dayê, ku nobedarê zor û alava (agirva) tijî bû.
9. 9Bi rastî ji bona guhdarîyê, em di şûnê xurî da di (ezman) da rûdiniştin, îdî kîjan di naha da guhdarî bike alava nobedarekî dîdeban rastê wî tê.

10. 10Bi rastî me nizanîye gelo (Xuda) ji bona wanê di zemîn da sikatî va ye, ya jî Xuda yê wan ji bona wan ra qencî va ye?
11. 11Bi rastî ji me (cunûkan) aştîkar hene, ça ji me ne aştîkar jî hene, ji bo ku em di rê û olê cure û cure dabûn evan nemekhevyan çê dibûn.
12. 12Bi rastî me guman dikir ku em nikarin di zemîn da Yezdan bêzar bikin û rava me jî (Yezdan) bêzar nake (ku me celat neke).
13. 13Gava me bi rastî beledî bihîst, îdî me bi wê (Qu´ran) ê bawer kir. Kîjan bi Xuda yê xwe bawer bike, îdî ewa bila ji kêmaya xelat û celat kirinê netirse.
14. 14Û bi rastî ji me Misilman jî hene û ji me ji rê ya (rast) derketî jî hene, îdî kîjan Misilman bibe,ewan li rê ya rast geryane.
15. 15Ewanê ji rê ya rast derketine hene! Îdî ewan ji bona doje ra bûne ardûk.
16. 16(Yezdan li ser gotina meçêtiran aha dibêje): "heke ewan (cunûkan) di rê ya rast da bi çûnan, meyê ewan bi aveke pir av bidan (ku rojînê wan pir bibû ya).
17. 17Ji bo ku em ewan di qencîyan da biceribînin (ka sipasî ya qencîne me dikin, ya qe nakin. Û kîjan ji sipasî ya Xuda yê xwe rû bifitilîne (Xuda yê wî) ewî dixe şapateke serberjêrkar.
18. 18Bi rastî mizgevt hemû ji bona Yezdan r anin, îdî hûn (di wan mizgevtan da) ji tu kesî ra perestî nekin.
19. 19Bi rastî gava bendeyê Yezdan rabûye gazî bal perestî ya wî kirîye (ewan cunûkan) nêzîk dibûn, ku wekî kulavan ( li dora Pêxember bicivin) ewî binixîmînin.
20. 20(Muhenuned! tu ji bona wan ra aha) bêje: "ez hey bi rastî perestî ya Xuda yê xwe dikim. Û ez ji bona Xuda yê xwe ra jî, tu kesî naxme hempa".
21. 21Tu (ji bona wan ra aha) bêje: "bi rastî ez ji bona we ra qe tu zîyan û rehberî nakim".
22. 22Tu (ji bona wan ra) bêje, "bi rastî (heke Yezdan nexwaşyekî bide min) tu kes ji pêştirê wî min naparisîne, ez ji pêştirê Yezdan jî rastê tu kesekî, ku xwe bavêjime berbextê wî nayêm."
23. 23Ez hey (wan bi yarne) Yezdan û pêxemberî ya wî ku li bal min da hînartîye, li bal we da radigihinim. Kîjan bê gotina Yezdan û qasidê wî bike, îdî ji bona wî ra agirê dojê heye. Ewanê di dojê da her bimînin.

24.24Heya ewan, ewê şapata, ku ji bona wan ra hatîye peyman danê dibînin, îdî ewanê bizanin ka bi arîkar kê bêwec û hindikin.
25.25(Muhemmed! tu ji bona wan ra aha) bêje: "Bi rastî ez nizanim; gelo ewa (şapata) ji bona wan ra hatîye peymandanê nezîke ya jî Xuda yê minê ji bona wî ra danekî dirêj çêke.
26.26Zana yê bi veşartîyan, hey (Yezdan ê), îdî tu kes li ser veşartînê (Yezdan da) nayê.
27.27Ji pêştirê ewan qasidên, ku bi xweber ji bona zanîna wan ra qayîl be. Loma îdî (Yezdan) di ber û paşî ya wan (qasidan) dadîdevanan digerîn e.
28.28(Yezdan aha) dike; ji bona ku ewa bizane bi rastî ewan pêxemberan fermanê Xuda yê ragihandine. Û çiz anîn li bal wan heye ewî ewn hemû hildane binê zanîna xwe û hemû tişt jî jimartin e.

## Chapter 73 (Sura 73)

1. 1Kesê (te) xwe di kincê xwe da peçaî!
2. 2Di şevê da rabe (perestî bike) ji pêştirê hindikê (ji şevê).
3. 3Di nîvê şevê da (rabe) ya jî hindik ji wî nîvî jî bibore.
4. 4Ya jî hinekî ji wî nîvî pir bike û tu Qu´ran ê hêdî û tîpên wî ji hev derxe, bixûne.
5. 5Bi rastî emê di nezîk da, gotineke giran li ser te da bavêjin.
6. 6Bi rastî temtêla (merivên) di şevê da rabû î (ji bona xebat û perestîyî) û xwûndinê, şidya û bi hêztir e.
7. 7Loma bi rastî di royî da ji bona te ra danê xebatên dirêj hene.
8. 8(Muhemmed!) tu bi navê Xuda yê xwe (bi xwûne) tu ji hemî (xebat û sêwrandinan) dile xwe vala bike, xurî hey li bal (Xuda yê xwe da) bizvire.
9. 9(Ewa Xuda yê te) Xuda yê rojhilat û rojava ye. Ji pêştirê wî, tu Yezdan ê babetê (Perestîyê) tunene, îdî tu ewî bi tenê ji xwe ra cînîşte bigire.
10. 10Û tu li ser gotinê wan hew bike, tu bi qencîyan dest ji wan berde.
11. 11Tu min ü ewanê maldarên virek bi tenê bihêle û tu hindik dan ji wan ra bide.
12. 12Loma bi rastî li bal me (ji bona wan ra) serberjêr kirin û agirê doja pêketî heye.

13. 13Xwarinê (bi sturî) û xenoqe û şapata dilsoz heye.
14. 14Di wê rojê da zemîn çîyan dihejin û çîya di binê wekî tîxê qumê da dimînin.
15. 15(Geli merivan!) Me ça li bal Fir´ewn da qasidek, şandibû bi rastî wusa jî me li bal we da qasidek şandîye ji bo ku li ser we bibe nihrewan.
16. 16Îdî Fir´ewn bê gotina wî qasidê kiriye, mejî Fir´ewn bi girtinekî (zor şapat va) îdî girtîye.
17. 17Erê heke hûn filetî ya wî bikin, ka hûnê ça (ji şapata) wê roya, ku zar tê da kal dibin, xwe biparisînin?
18. 18Ezman (ji tirsa) di wê royî da çiryaye.Bi rastî peymana (Yezdan bi şapatdana wan) pêk hatîye.
19. 19Bi rastî evan(beratan) şîret in, îdî kîjan hez bike, ewa (ji bo çûna) li bal Xuda yê xwe da rêyekî digire.
20. 20Bi rastî Xuda yê te dizane, ku tu ji sê parê şevê nêzîkê duparan, yan jî nîvê şevê, yan jî sê parê şevê, di parekî da radibî (nimêj dikî). Destekî ji wanê bi ter a jî (wekî te radibin, Xuda yê xwe te bi wan jî dizane). Pîvandina şev û royan Yezdan dike. Ji ber ku ewî dizanibû, hûn nikarin (danê xweyê şevê) bipîvin (di wan danan da ranabin) îdî ewî hûn (ji hijmara wan danan) baxişandîne. Îdî ji Qur´an ê (ji bona we ra) çi hêsaîye, ewî bixwûnin (zor nedine xwe)! Ji ber (Yezdan) zanîbû, ku wê ji we nexwaşê hebin û destekî ji we di zemin da ji rûmeta wî rojînê xwe bigerin û destek jî di rê ya Yezdan da qirînê (bi wanê file ra) bikin (eva hêsaya hanê, ji bona we ra pêk anî). Îdî (gelî bawerkeran!) ji (Qu´ran ê ji bona we ra) çi hêsaîye, hûn ewî bixwûnin (zor nedine xwe). Hûn nimêj bikin û baca malê xwe bidin, hûn ji bona qayîlbûna Yezdan, bi qencî ji hev ra deynan bidin. Hûn ji bona xwe ra ji qenrîyan çi pêş da pêk bînin, hûnê li bal Yezdan rastê wî werin, ku ewa (ji bona we ra) qencîyeke û meztirê kiryane. Hûn baxişandina xwe ji Yezdan bixwazin, loma bi rastî Yezdan baxişkarê dilovîn e.

## Chapter 74 (Sura 74)

1. 1Yê xwe di kinca da pêcayî!
2. 2Tu rabe, îdî tu (merivan) hişyar bike.

3. 3Û tu Xuda yê xwe (ji hevrîtî ya pûtan) bi mezinahî paqij bike.
4. 4Û tu îdî cilê xwe paqij bike.
5. 5Û tu îdî dest ji pîsî ya berde.
6. 6Û tu tilfa bi kirina xwe neke, ji bo ku tu (hember ya wan) pir hildî.
7. 7Îdî tu ji bona (qayîlbûna) Xuda yê xwe ra hew bike.
8. 8Îdî gava (ji bona hewarê) di stûrî da hatibe qîkirinê.
9. 9Îdî ewa roya royeke pir tenge.
10. 10Li ser filan qe hêsaî nîne.
11. 11Tu min û ewî (fileyê) ku min ewa rût afirandîye bi tenê bihêle.
12. 12Min ji bona wî ra malê peyweste daye.
13. 13Û zarên xûyaî jî daye.
14. 14Û min ji bona wî ra qencî raxistibû.
15. 15Paşê ewî jî dixwast, ku ez ji wî ra hêj pir bikim.
16. 16Na! (ez ji bona wî ra pir nakim) loma bi rastî ewa ji bona beratene me ra înçkar bûye.
17. 17Di nêzîk da bi rastî ezê ji bona bilindî ya wî ra (şapatan) raxim.
18. 18Bi rastî ewî raman kirîye û pîva ye.
19. 19Îdî ewa bimire (hatîye kuştinê) ka ewî ça pîva ye?
20. 20Paşê dîsa ewa bimire, ka ewî biçi awayî pîva ye?
21. 21Paşê li wan (pîvanê xwe) mêze kirîye.
22. 22Pasê murûzê xwe kirîye û rûye xwe tirş kirîye.
23. 23Paşê pişta xwe daye xwe qure kirîye.
24. 24Îdî (aha) gotiye: "Bi rastî eva (Qur´an a) ançeke; ji şopa wan ançne borîne."
25. 25Bi rastî eva (Qur´an a) hey gotinêmerivan in.
26. 26Di nêzîk da ezê jî ewî bavêjime (doja) sar.
27. 27Tu ji kû dizanî gelo ka (doja) sar çîye?
28. 28(Ewa doja) di para da tu tiştî nahêle û tu kesî bernade.
29. 29Ewa (doja) çerman hişk dike.
30. 30Li ser (wê dojê) nuzdeh (ferişteyên fermande) hene.
31. 31Ji bona ku ewanê pirtûk ji wan ra hatîye bizanin bi rastî ewa pirtûka ji wan ra hatîye maf e û bawer ya wanê, ku bawer kirine jî pir bibe û ji bo ku ewanê ji wan ra pirtûk hatîye û ewanê bawer kirine dudil nebin û ji bona ku

ewanê di dilê wan da nexwaşî heye û ewanê bûne file (aha) bêjin, ka Yezdan bi van hecwekîyan çi va ye? Me hevrîne dojê hey ji ferîştan çê kirîye, me hêjmara wan (ferîştan) ji bona wanê, ku bûne fıne raxistîye ceribandin. Bi vî awayî Yezdan ji kîjanî ra bivê, rê ya xwe li ber wî wunda dike û ji kîjanî ra jî bivê,ewî tîne rê ya rast. Ji pêştirê Xuda yê te tu kes bi hêjmara leşkerê wî nizan e.Ewa (doja sar) ji bona kesan ra hey şîretek e.

32.32Nal (bi gotina wan filan nîne) bi hîvê.

33.33Û bi danê şevê gava dizvire diçe.

34.34Û bi danê sibehê jî gava zer dibe.

35.35Sond dixum, ku ewa (doja sar) yek ji wan (şapatên) mezin in.

36.36(Ewa doja) ji bona merivan ra hişyar bûnek e.

37.37(Her wusan jî) ji we kîjanê bivê, ku di qencîyan da pêş û paş da bikeve, ji bona (wî ra jî hişyar bûnek e).

38.38Her kesek gerewa kirina xwe ye.

39.39Ji pêştirê (wanê pirtûka wan) li rastê wan da hatîye dayînê.

40.40Ewanan di behiştandan in.

41.41Ji gunehkaran dipirsin.

42.42Gelo çi tişti hûn xistine vê (doja) sare qeremok?

43.43Ewan (aha pisyara wan dane û) gotine: "Bi rastî em ji wanê nimêjker ne bûn."

44.44Me ji bona belengazan ra jî xurek ne dida.

45.45Û em bi leyîztik hazan ra noqê leyîztikê dibûn.

46.46Û me bi roya xelat û celatan vir dikir (bi wê bawer ne dikir).

47.47(Em di van kirinan da bûn) heya mirina me hat.

48.48Îdî mehder ya tu mehdervanî kêrê wan ne hat.

49.49Bi vî ra jî gelo ji bona wan ra çi bûye ku ewan (ji Qur´an ê) rû difetilînin?

50.50Tu dibê qey ewan kerên kovîn e.

51.51Ji şêran silikîn e.

52.52Na! (ewan ji wan şîretan hiş hilnadin) lê divên, ku ji bona wan heryekê ra rûpelên vekirî li ser navê wan ji Xuda yê wan bihata, paşê bawer bikirinan.

53.53Na! (ji bona wan ra ewan rûpelan nayên) lê ewan ji (şapata) para da natirsin (loma bawer nakin).

54. 54Na! (bila ewan ji wan kirinê xwe para werin) loma bi rastî ewa (Qur´an a) hişyar bûneke (sedritî ye).
55. 55Îdî kîjan bivê, ji bona xwe ra ji wê (Qur´an ê) şîretan hildide.
56. 56Ji pêştirê wanêYezdan va ye, ku ji (Our´an ê) şîretan hildin, qe tu kes şîretan hilnade. Bi rastî (Yezdan) babete ji bo parizî û baxişandinê ra.

## Chapter 75 (Sura 75)

1. 1Ho! Ez bi roya qarsê sond dixum.
2. 2Û ho! ez bi canê, ku (li ser kirinê xweyê sik) li xwe tatan dike sond dixum.
3. 3Qey meriv guman dikin, ku ji (piştî mirinê) em hestûyê wan nacivînin?
4. 4Erê! (emê hestûyê wan bicivînin) em dişên, ku momikê tilîyê wan jî rast bikin.
5. 5Lê bi rastî meriv di vên, ku di berxwe da jî (aşîtan) derxin (loma bi peyweste gunehan dikin).
6. 6(Bê tebat) meriv dipirsin; ka roya qarsê kîngê ye?
7. 7Îdî gava çav dibirûs e.
8. 8Û rûyê hîvê hatibe girtinê.
9. 9Û roj û hîv bi hev ra civyabin.
10. 10Di wê royê da meriv (aha) dibêjin: "Ka merivê kuda bireve?"
11. 11Na! (rev çênebe) loma tu penah tune ye.
12. 12Di wê royê da hewandin hey li bal Xuda yê te ye.
13. 13Di wê royê da ji bona merivan ra tişta ewan pêş û paş xistîye tê gotinê.
14. 14Bi rastî (di wê royê da) meriv li ser xwe; bi kirin û ne kirinê xwe dîdevan e.
15. 15Çiqa hinek tatê xwe jî bêje.
16. 16(Muhemmed!) tu zimanê xwe (hêj di berya dawî ya niqandê nehatî ye) ji bona lez kirina (ezber ya Qur´an ê) ne hejîn e.
17. 17Loma bi rastî civandin û xwundina wê (Qur´an ê) li ser me ye.
18. 18Îdî gava me Qur´an xwund, tu jî îdî bibe peyrewê wê xwundinê.
19. 19Paşê bi rastî huzwartina wê (Qur´an ê) li ser me ye.
20. 20Na! (hûn ji lezbûnê para naçin) lê hûn ji lezbûnê hez dikin.
21. 21Û hûn dest ji para da jî berdidin.
22. 22Di wê royê da hinek rû hene, ji bedewî ya xwe diçilwulin.

23.23Li bal Xuda yê xwe da mêze dikin.
24.24Û di wê royê da hinek rû jî hene, temirîn e.
25.25Loma guman dikirin, ku wê hestûyê pişta wan bê şikênandinê.
26.26Na! (bira lez nekin). Lê gava can gihîjte pira hestûyê stû.
27.27Û (aha) bê gotinê: "Gelo kê dikare (ewî derman bike) rake".
28.28Û ewî guman kirîye, ku bi rastî îdî danê raqetandina wî ji cihanê ye.
29.29Îdî (ji zerpa mirinê) çîq li hev aylan e.
30.30Di wê royê da hey şandin li bal Xuda yê te da ne.
31.31Îdî ewî (fileyê) rastdarî û nimêj ne kirîye.
32.32Lê hey vir kirîye, pişta xwe da ye wan.
33.33Paşê çû ye bal malînê xwe, xwe qure kirîye.
34.34Îdî (mêriko!) xwelî ji bona te ra be, xwelî li serê te be.
35.35Dîsa xwelî ji bona te ra be, xwelî li serê te be.
36.36Maqey meriv guman dikin, ku merivê bahorde bê berdanê?
37.37Maqey ewa (meriva) ji aveke hilwejoke bênketî çi ne bûye?
38.38Paşê bûye zûryekî, îdî (Yezdan) ewa afirandîye û pêk anîye.
39.39Îdî (Yezdan) ji wê du zon e; nêr û mê çê kirîye.
40.40Maqey ewê ku, evan (bi afirîne) naşê ku miryan zende bike!

## Chapter 76 (Sura 76)

1. 1Bi sond! meriv qe hêj tu tişt ne bûye, ku navê wî bihata gotinê; dan û demê pir dirêj li ser da borîye (paşê ji xalya qîmîtîye bênketî hêdî hatîye afirandinê).
2. 2Bi rastî mc meriv di temtêlne pey hev da,ji aveke tevlihevê (ji nêr û mêyan) afirandîye, îdî ji bo ku emê ewî biceribînin, me ji bona wî ra bihîstin û dîtin çê kirîye.
3. 3Bi rastî me ji bona wî ra rê nîşan daye, îdî ewa (meriva) ya sipazî û ya jî nankorî dike.
4. 4Bi rastî me ji bona filan û nankoran ra, zincir û bend û doja hilopît amade kirîye.
5. 5Bi rastî ewanê qenc jî hene! ewanan, meya ku tevê kafûrê bûye, di şelbikan da vedixwun.

6. 6(Ewa meya) kanyeke wusane, bendanê Yezdan ji wê (kanîye) vedixwun.(Ewanbendan ewê) kanîyê ça bixwazin, wusa didine kişandinê.
7. 7Ewan (qencan) gorînê xwe pêk tînin. Ewanan ji wê roja ku aşîta wê belav dibe ditirsin.
8. 8Bi hez kirina xwe, xurekan ji bona belengaz û sewî û zebûnan ra didin.
9. 9Ewan (ji bona hewcan ra aha dibêjin): "Em hey ji bona qayîlbûna Yezdan bi we didine xwurinê. Loma me ji we qe xelat û sipazî navên.
10. 10Loma bi rastî em di roja rû tirş û bi mirûz da ji (şapata) Xuda yê xwe, ditirsin.
11. 11İdî Yezdan jî ewanan ji şapata wê royê parisandin û Yezdan ji bona wan ra (rûyekî) bi ken û (dilekî) fire daye.
12. 12Bi sedema, ku ewan li ser (cefan) hew kirine, xelata wan (di wê royê da) behişt û hevirmûş e.
13. 13Ewanan di (behiştê da) û ser kursîyan paldayîne ewanan di (behiştê da) germa (şewatok) û serma (qermandok) nabînin.
14. 14Û sîne (darê behiştê) bi ser wan da hatîye vegirtinê, çiqilên (daran ji bona weşandina beran) berjêr bûne, hatinê jêrê.
15. 15Bi firaqê ji zîv û bi misînên ji biloran li ber wan digerin.
16. 16Ewan îstekanê ji zîv in, bi pîvandin hatine pêk anînê.
17. 17Û ewanan (di behiştê da) bi aveke wusa têne avdanê, ku ewa (ava) bi zencefîlê hatine tevdane (di wan şûşan da) vedixun.
18. 18Eva di (behiştê da) kanyeke jêra selselbîl tê gotinê.
19. 19Ewan (vexurinan) zarên, ku di (behiştê da) hermaîne li dora wan da digerînin. Gava tu (ewan zaran) dibînî, tu dibê qey luluyê zêr kildayîne.
20. 20Tu çi gavê li wura mêze bikî (tu di wura da) qencî û maldar ya mezin dibînî.
21. 21Li ser (behiştîyan) kincê ji hevirmûşê kesk û birqonek hene. Ewan ji bazinê zîv xwe xemilandin e. Xuda yê wan, ewan bi aveke paqij dane avdanê.
22. 22Bi rastî ewa ji bona we ra xeleteke û xebata we hatîye sipaz kirinê (litê kirinê).
23. 23(Muhemmed!) bi rastî me Qur´an bi vekirî li ser te da hînartî ye.

24.24Îdî ji bona berawanî ya Xuda yê xwe tu hew bike û tu ji wan (filan) qe bigotina tu gunehkar û nankoran neke.
25.25Û tu bi navê Xuda yê xwe di sibeh û êvaran da perestî bike.
26.26Û di hinekî şevê da, îdî tu ji (Xuda yê xwe ra) kunde behere û tu di şeva dirêj da jî perestî ya (Xuda yê xwe) bike.
27.27Bi rastî evanan (ji vê cihana) zû çûyî hez dikin û dest ji wê roja girane pêş ya xwe da berdan e.
28.28Me ewan afirandine û me (momikên wan) pevxistine û ewan bi hez kirine û gava em bivên jî, emê ewanan bi hinekî wekî wan ra biguhurînin.
29.29Evan beratan şîret in; îdî kîjan bivê, wê li bal Xuda yê xwe da ji bona xwe ra rêyekî bigire.
30.30Û hûn bi xweber jî ji pêştirê vîna Yezdan qe tu tiştî navên.Loma bi rastî Yezdan pirzanê bijejke ye.
31.31Ewa ji kîjanî ra bivê ewî dixe nava dilovanî ya xwe. Ewî ji bona cewr karan ra jî şapateke dilsoz amade kirîye.

## Chapter 77 (Sura 77)

1. 1Bi wan (bayê) şandayê (peywestene) ji bona qencîyan.
2. 2Bi wan (bayê) bagerok.
3. 3Bi wan (bayê) vekerokê (tiştan e).
4. 4Bi wan (bayê) ji hev derxistok.
5. 5Bi wan (bayê) bûyerên (borî) tîne bîra merivan.
6. 6Tatan û ya jî hişyarîyê.
7. 7(Sond dixum!) tişta ji bona we ra hatîye peymandanê, wê hatibe.
8. 8Îdî gava sitêrk biçilmisin.
9. 9Û gava ezman ji hev çirya (ji hev çû).
10. 10Gava çîya hatine jenandinê.
11. 11Û gava qasid (ji bona nihrewanîyê) danê ra dewanîyê dabe.
12. 12(Aha tê gotinê): "Ji bona kîjan royê "Dan" para hatîye danînê?
13. 13Ji bona roja berewanî (tê da tê kirinê).
14. 14Tu ji ku dizanî, ka roja berewanîyê çîye?
15. 15Di wê royê da, xwelî li derewdêran be!

16.16Maqey me ewan (virekê) berê teşqele ne kirîye?
17.17Paşê emê ewanê para da mayî jî bûne peyrewê wan.
18.18Bi vî awayî em gunehkaran (celat) dikin.
19.19Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
20.20Maqey me hûn ji aveke sike tîr ne afirandîne?
21.21Îdî me eva (ava) di ewreke parisvane bi hêz da cîh kirîye.
22.22Heya danekî dîyarî.
23.23Îdî me ewa (ava) pîva (xistiye meriv). Îdî pîvdanok çiqa qenc e!
24.24Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
25.25Maqey me zemîn ne xistîye şûna civînê?
26.26Ji bona zindî û miryan.
27.27Û me di zemîn da çîyane bilindê dirêj binecî danîne û me hûn bi ava hêsaî û şirin dane avdanê.
28.28Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
29.29Hûn (gelî filan!) li bal wê (şapata) ku we bi hatina wê derew dikinir, herin.
30.30Hûn li bal wê sî ya (doja) sê şax da herin.
31.31Ewan (sîyan) sîwanê nakin û ji pêtê agir jî (naparisînin).
32.32Bi rastî ewa (doja) pêtê wusa devêje, ta dibê qey wekî koşkan in.
33.33Ewan (pêtê hatine avêtinê) tu dibê qey pîletê keleka nin (ji agirê) sor (dirêj bûne).
34.34Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
35.35Eva roja royeke wusane qe ewan tê da na-axivin.
36.36Ji bona wan ra destûr nayê dayînê heya, ku ewan tatê xwe jî bixwazin.
37.37Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
38.38Ewa roja (ku pûçî û rastî ji hev ra diqete) eva ye. Emê we û ewanê berya we da (di vê royî da) bicivînin.
39.39Îdî heke ji bona we ra endeze hene (ku hûn xwe bi wan fereste bikin) ka ji bona xwe ra endezan bikin.
40.40Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
41.41Bi rastî Xuda-pariz di nava sîwan fi kanî ya danin.
42.42Di nava êmîşên dilxwastî danin.
43.43Hûn (gelî Xuda parizan!) bi sedema kirinê xwe bigivirandin bixwun û vexun, noşê canê we be.

44.44Bi rastî em bi vî awayî qenckaran xelat dikin.
45.45Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
46.46(Gelî gunehkaran!) hûn hindik bi xwaşî bixun û bijîn. Qe (tu zîyan tuneye) bi rastî hûn gunehkar in.
47.47Di wê royê da xwelî liderewdêran be.
48.48Gava ji bona wan ra hatîye gotinê: "Hûn ji bona (Yezdan ra) xwe kûz bikin. Ewan (ji bona Yezdan ra biperestî) xwe kûz nakin.
49.49Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
50.50Îdî gelo ji piştî (Qur´an ê) ewanê bi kîjan axiftinê bawer bikin?

## Chapter 78 (Sura 78)

1. 1Ewa (filan) çi tiştî ji hev dipirsin?
2. 2(Qey) ewan ji wê Peyva (Qarsîya) mezin ji hev (dipirsin?)
3. 3Ewa (Qarsî ya) ku ewan (di hebûna) wê da ne wek hevbûne.
4. 4Na! Bi rastî (wekî gotina wan nîne,lê ewanê) di nêzîk da bizanin.
5. 5Paşê (dîsa wekî gotina wan nîne, lê ewanê) di nêzîk da bizanin.
6. 6Maqey me zemîn (ji bona wan ra) nexistîye hêlan?
7. 7(Me) çîya jî (ji bona zemîn ra ne xistîye) sing?
8. 8Û me hûn bi zotî afirandine.
9. 9Me xewa we jî (ji bona ew ra) xistîye rawestandin.
10. 10Û me şev jî (bi tarîtî ya wê va ji bona we ra) xistîye xewkirin.
11. 11Û me roj jî (ji bona we ra) xistîye (danê) jînê (ji bo ku hûn tê da bixebitin).
12. 12Û me di jora we da heft ramaxne bi hêz ava kirîye.
13. 13Û me (di wan ramaxana da) çirane çilwulok çêkirine.
14. 14Û me ji ewrne givaştok aveke şîroke hinartîye.
15. 15Ji bo ku em bi wê (avê) lub û hêşnayan derxin.
16. 16Û em (bi vê avê) bax û rezne li hevalyaî (derxin).
17. 17Bi rastî roja (pûçaî û maf) ji hev radiqete heye! Bûye danê radewa ê.
18. 18Hûnê di roja di stûrî da tê puf kirinê, îdî deste deste werin.
19. 19(Di wê rojê da) ezman vebûye; îdî derî derî çêbûye.
20. 20Û çîya (ji şûna xwe) hatine ajotinê, îdî bûne leylan.
21. 21Bi rastî doj jî bûye dîdevan.

22.22Ji bona wanê rê derketî bûye êwir.
23.23Ewanê di wura da pur danan bimînin.
24.24Ewan (di dojê da) saritî û ave çeşne nakin.
25.25Hey hilmojek û kêmê (çeşne dikin).
26.26Eva celata (ji bona kirinê wan ra) gavîkan bûye.
27.27Loma ewan guman ne dikir, ku wê kirinê wanê bêne hijmartinê.
28.28Û ewan beratene me bivir di dane derewdêrandinê.
29.29Û hemî tişt me bi nivîsarî hijmartîye.
30.30Îdî hûn çeşna (kirinê) xwe bikin, îdî em ji bona we ra hey şapatê pur dikin.
31.31Bi rastî ji bona Xuda parizan ra serfirazî hene.
32.32Bostan û rezê tiryan (hene).
33.33Perîne hevsalî, ku memikne wan hêj gulîkdane (hene).
34.34Û kasikne tijî mey (hene).
35.35Ewan (Xuda parizan) di wura da vir û mijûlîne kêrnehatî nabihên.
36.36(Eva) xelata ji Xuda yê te(ji bona wan ra hatîye dayînê) dayîneke wusane nayê hijmartinê.
37.37Xuda yê ezman û zemîn û di nîveka wan herdukan da heyî (Yezdan ê) dilovan e; ewan (heyan)qe ji wî mijûl nabin.
38.38Di wê rojê da can û fereşte gargî dibin, li bal wî ji pêştirê wîyê ku Yezdan ê dilovanji bona wî ra destûra axiftinê daye û gotinê qencî bêje, qe tu kes nikare bi axive.
39.39Roja mafê (ku hatîye peyman danê) evaye. Îdî kîjan bi vê ewa li bal Xuda yê xwe (ji bona xwe ra) êwrekî digire.
40.40Bi rastî me hûn bi şapateke nêzîk dane hişyarkirinê. Di wê rojê da meriv li bal wan tiştne, ku hêj di berê da kirîya mêze dike û file (aha) dibêje: “xwazîka ez xwelî bûma (ne hatima vê derê).“

## Chapter 79 (Sura 79)

1. 1Bi wan (fireştene) can sitandne fereşandok.
2. 2Bi wan (fireştene) ku canan bi hêsanî distînin (û dev) bi kenin.
3. 3Û bi wan sitêrke (di hewa da) melevanî dikin.
4. 4Û bi wan (fireştene) daberhevne (ku ji hev) di borin.

5. 5Bi wî yê ku bûyerana pêk tîne (sond di xum)!
6. 6Ku roja (di stûrî da tê puf kirinê) hej(bi zemîn digire û ) di heje.
7. 7Li peyda jî hejeke dinê digire.
8. 8Di wê rojê da dil (ji mirûzûyê) di silikin.
9. 9Çavê (xweyê wan dilan ji tirsa) di telisin.
10. 10(Aha ) dibêjin: « ma qey bi rastî (ji piştî mirina me, ku em ketine goran) dîsa emê (wekî temtêla xweyê berê) rabin? »
11. 11« Qey gava em bibûna hestûyê rizî jî ? »
12. 12Ewan (aha) gotine: « bi rastî (eva) zivirandina zîyaneke.
13. 13Îdî (eva) bi rastî zaroke bitenê ye.
14. 14Nişkêva ewan hişyar bûn e.
15. 15Bi sond!ji tera dabaşa (serdaborya) Mûsa hatîye.
16. 16Gava Xuda yê (Mûsa) di newala pîrozê (bi nav) « Tuwa » da gazî wî kirîye.
17. 17(Ji ra aha gotîye): « tu here bal Fir'ewn, loma bi rastî ewa ji avaril derketî ye ».
18. 18Îdî tu (ji bo wî ra aha) bêje: « tu hez dikî, ku ez beledîya te li bal rîya rast da bikim, ku tu (ji sikatîyan) fereste bibî? »
19. 19Heke îdî tu (ji Xuda yê xwe , yan jî ji danê dawîyê) bi tirsî, ezê belidî ya te li bal Xuda yê te da bikim.
20. 20Îdî (Mûsa) beratenê mezin daye nîşanê Fir'ewn.
21. 21Paşê (Fir'ewn)ewan (beratan) dane derewdêrandinê, serî hilda.
22. 22Paşê pişta (xwe daye Mûsa) bi lez çû ye.
23. 23(Merivê xwe) civandin îdî (aha) li wan çir kirîye.
24. 24Û (aha ji bona wan ra) got : "bi rastî ez xudayê weyê bilintirê mezin im."
25. 25Îdî Yezdan ewa wusa şapat kir, ku ewa bi wê şapatê ji bona wanê borî û para da tên bûye (bereketa sodret).
26. 26Bi rastî ji bona wanê , ku (ji Yezdan) ditirsin di van (bûyeran da) beratenê sodret hene.
27. 27Gelo di afirandinê da (ji piştî mirinê) ku hûn têne afirandinê zor e, yan jî (afirandina) ezmanan ? (ewî ezman) ava kirîye.
28. 28Ewî (ezman )di jor da bilind kirîye, îdî wekî hev rast kirîye.
29. 29Û şeva wî (ezmanî) tarî kirîye, roja wî ronahî kirîye.
30. 30Paşê (Yezdan) zemîn jî gulok kirîye.

31. 31Ewî ji zemîn, av û kovîçêrê wî derxistîye.
32. 32Û çîyane (zemîn jî) di zemîn da birakutî şandî ye.
33. 33Ewî (evan) ji bona wê û ji bona tarişê we ra kirine (j ibo ku hûn daborîya xwe pêk bînin).
34. 34Îdî gava ewa aşîta mezin hat (hemû tişt hildan e binê xwe, tune kirîye).
35. 35Di wê rojê da merivan çi kiribin tînin e bîra xwe.
36. 36Û doj jî ji bona wanê dibînin ra xuya bû ye.
37. 37Îdî kîjan ji (rîya rast derketibe) avarû rijandibe.
38. 38Û jîna cihanê ji xwe ra helbijartin e.
39. 39(Ji bona wî ra) bi rastî êwra wî doj e.
40. 40Û kîjan jî ji (hewandina di hemberê) Xuda yê xwe tirsîyabe û xwe ji xwastina canê xwe parisandibe.
41. 41(Ji bona wî ra) bi rastî êwra wî hey bihêşt e.
42. 42Ewan ji te danê qarsê dipirsin ; ka danê şandina (qarsê) kengê ye ?
43. 43(Heke Yezdan nebe) tu ji kêderê dikerî (zanîna bi danê qarsê) bêjî ?
44. 44Dawîya (zanîna )ji wî danî hey li bal Xuda yê te ye.
45. 45(Muhemmed!) tu hey dikarî ewanê ji (hejmara di roja qarsê da) ditirsin, bidî hişyar kirinê.
46. 46Gava (ewan) wê rojê dibînin tu bidê qey ewan (di cihanê da) şevekî, yan jî danê taştî ya wê (şevê) man e (wusa diqilqilin).

## Chapter 80 (Sura 80)

1. 1Rûyê xwe tirş kirîye û pişta xwe (daye).
2. 2Ji bo ku ewa kora hatîye.
3. 3Tu çi dizanî? Bi rastî dibe ku xwe paqij bike.
4. 4Yan jî şîretan bike, îdî şîret kêrî wî werin.
5. 5Lê ewê, xwe hewce nabîne.
6. 6Îdî tu ji bo wî ra raber dibî.
7. 7Û çi ji te ra ku ewa xwe ji (filetîyê) paqij nake.
8. 8Lê ewê bi lez hatîye bal te.
9. 9Ji (Xuda) tirsîyaye, loma hatîye.
10. 10Îdî tu jî ji wî rû difetilînî!

11.11Na! (wusa nabe) loma bi rastî (Qur´an) şîretek e.
12.12Îdî kîjan ji vê, wê ewê şîretê hilde.
13.13Ewa (Qur´an a) di rûpelne rûmetdar danin.
14.14Bilind û paqij e.
15.15Di destê balyozne (ji firêşte danin).
16.16Ewan (firêştan) rûmetdar û qencîkar in.
17.17Xwelî li meriva be, çiqas nankor in.
18.18(Gelo) ewa (meiva) qe mêze nake, ka (Yezdan) ewa ji çi afirandîye?
19.19(Yezdan) ewa ji aveke tîre avotek afirandîye, îdî paşê ji wî ra rûçik daye.
20.20Paşê (Yezdan) rêya wî hêsanî kirîye.
21.21Paşê (Yezdan) ewa mirandî ye, îdî ewa xistîye gorê.
22.22Paşê gava (Yezdan) bivê dîsa ewî zindî dike(di weşîne).
23.23Na! (gotina merivan nîne) bi rastî tişta (Yezdan ferman) kiribû; ewî pêk ne anîbû.
24.24Îdî bila meriv carekîli bal xurekê xwe ra mêze bike.
25.25Me ça (ji bona piranîya xwarina wî) aveke pir rijandî ye.
26.26Paşê me zemîn (ji bo hêşinaîyê) ça çirandî ye.
27.27Îdî me (di zemîn da) lub hêşîn kirîye.
28.28Û (me) tirî û nefel jî (hêşîn kirîye).
29.29Û me zeytûn û xurme jî (hêşîn kirîye).
30.30Û (me) bostanne (darê wan) ji hev derbvaz bûyî jî (hêşîn kirîye).
31.31Û (me) êmîş û mêrg jî (hêşîn kiriye).
32.32Ji bona (ku hûn daborya xwe pêk bîn in) me evan ji bona we ûtarişê we ra pêk anî ye.
33.33Îdî gava dengê ku ji (bona) rabûna we ra te, guhan ker dike.
34.34Di wê royê da meriv, ji birayê xwe direv e.
35.35Û ji dîya xwe û ji bavê xwe jî.
36.36Û ji hevalê jîna xwe û zarê xwe jî.
37.37Di wê royê da ji bona heryekê ji wan ra temtêleke wî heye, ewa îdî hewcê tiştekî nabe,
38.38Di wê royê da hinek rû hene diteyîsin
39.39Mizgînvanî bi hev diken in.
40.40Û di wê royê da hinek rû jî hene bi gemar in.

41.41Reşatî û taritî ewan rûyan niximandin e.
42.42Filene gunehkar evan bi xweber in.

## Chapter 81 (Sura 81)

1. 1Gava roj hate pêçandinê, herikî.
2. 2Û gava siterk (ji hev) verişîn ketne xarê.
3. 3Û gava çîya (ji zemîn bûne leylan) çûn.
4. 4Û gava dest ji malê civyayî hate berdanê (ya jî gava dest ji wê dema deh meh li ser da borî; gavê zayîna wê hatîye, hate berdanê).
5. 5Gava (tarişê) hov hatine civandinê.
6. 6Û gava avşîn li ser hev da kelîya, tevê hev bû.
7. 7Û gava can bi hev ra zo dibin.
8. 8Û gava ji keça hêj bûyî hate pirsînê.
9. 9Ji bo çi ewa hatîye kuştinê (bi zindî hatîye çal kirinê)?
10. 10Û gava rûpelên defterên (kirinan) têne vekirinê.
11. 11Û gava rûyê ezman ji dûmanan hate vekirinê.
12. 12Û gava doj bi pêtê agir hate pêxistinê.
13. 13Û gava behişt nêzîkê (merivan) bû.
14. 14Hemî kes dizane, ka (ji bona xwe ra) çi amade kirîye.
15. 15Ho! ez bi wan (siterkên ku di rojê da) tene veşartinê.
16. 16Di şevê da (wekî asan-xezal di guherê xwe da) dicivin.
17. 17Bi wê şevê, gava pişta xwe (daye taritîyê).
18. 18Bi wê sibehê gava ruhnaya wê derdikeve û bêhna xwe dide.
19. 19(Sond dixum!) evanê (Muhemmed ji bona we ra dibêje) peyvê qasidekî (Yezdan ê) ku bi rûmet û dilşad e.
20. 20Ewa qasida li bal (Yezdan ê) xweyê arşê bi hêz û xweyê cî ye.
21. 21Bi gotina wî (qasidê) tê kirinê û ewle ye.
22. 22Û hevalê we bi xweber jî tepa ketî nîne.
23. 23Û bi sond! (Muhemmed) ewa (qasida) li bêlanê bilindê xûyayî da dîtîye.
24. 24Û (Muhemmed) bi xweber jî ji bona (niqandina Qur´an ê bi ne xûyayî) nayê rexnekirinê.
25. 25Ewa (Qur´an a) gotina pelîdê deherandî jî nîne.

26. 26Îdî bi vira jî ka hûn kuda diçin (û bi çi bawer dikin)?
27. 27Ewa (Qur´an a) hey ji bona hamû gerdûnê ra şîretek e.
28. 28Ji bona wî kesê ji we, ku divê xwe rast bike (şîret e).
29. 29Hûn bi xweber jî hey tişta Yezdan ê Xuda ê cihanê va ye, dikarin ji bona xwe ra bivên.

## Chapter 82 (Sura 82)

1. 1Gava ezman çir ya.
2. 2Û gava siterk verişîn (ketne) xarê.
3. 3Û gava avşîn kelîya tevê hev bûn.
4. 4Û gava goran (xwelî ya xwe avîtin mirî) ji xwe derxistin.
5. 5Hemî can dizanin ka ji bona xwe ra çi tişt kirin e, pêşta (şandin e) û çi tişt ne kirin e para da (hîştin e).
6. 6Merivo! gelo tişta, ku tu ji Xuda yê teyê bi rûmetê dilşa çiya xapandîyî dûrxistîyî çîye?
7. 7Ewê tu afirandî, îdî tu rast kirî û tu xistî rûçikê merivan, ewa ye.
8. 8(Ewa) di kîjan rûçikî da bivê, te wusa berêk dike.
9. 9Na! (bi gotina we nîne, loma hûn bi na bawerî ya xwe bi tenê na hewin) lê hûn roya xelat û celatan jî didin e derewdêrandinê.
10. 10Bi rastî li ser we da (feriştenê) qencî nivîsarokan hene! (hûn çi dikin) ewan (feriştan, ewan kirinê we) diparisîn in.
11. 11Ewan (feriştan) qencê (nivîskaran in (loma kêm û pir nanivîsîn in).
12. 12Hûn çi bikin ewan (feriştan) pê dizan in.
13. 13Bi rastî (merivên) qencîkar (di behişta xuraka dan in).
14. 14Û bi rastî (merivên) gunehkar jî di doja (şewatê dan in).
15. 15Di roya xelat û celatê da (li bal dojê ta) tên e avîtin e.
16. 16Ewan qe (ji dojê) wunda nabin (dernakev in).
17. 17(Muhemmed!) ka tu ji kûderê dizan î, roya xelat û celatan çîye?
18. 18Paşê dîsa (Muhemmed!) ka tu ji kuderê dizan î, roya xelat û celatan çîye?
19. 19Ewa royeke wusaye kesek ji bona kesekî ra kêrê tu tiştî nayê. Di wê royê da hemî ferman ji bona Yezdan ra nin.

## Chapter 83 (Sura 83)

1. 1Ewanê ku di keş û pîvandina xwe da kemasî dikin, xwelî li wan be.
2. 2Ewanan gava tiştekî ji merivan bistînin; pîvandina wî bê kêmasî pêktîn in.
3. 3Gava ewan ji bona merivan ra bipîvin ya jî bikişîn in; ewan di kêş û pîvandina xwe da kêmasî dikin.
4. 4Maqey ewan guman nakin ,ku wê ewanê (ji piştî mirinê) rabin herne civînê?
5. 5Ji bona royeke mezin (wê rabin).
6. 6ku di wê royê da meriv radibe (hijmara kirinê xwe) ji bona Xuda yê cihanê ra (dide).
7. 7Na! (gotî ewan kêş û pîvanê xwe bi kêmasî nekin) loma bi rastî nivîsara (kirinê) gunehkaran di sicîlan da hatîye pêk anînê.
8. 8(Muhcmmed!) tu ji ko dizanî ka sicîl çîye?
9. 9Ewa (sicîla deftereke wusane) hemû kirinan tê da cî hilda ye.
10. 10Di wê royê da xwelî li derewdêran be.
11. 11Ewan (derevdêran) roya xelat û celatan didine derewdêrandinê.
12. 12Ewê royê hey ewanê ji tuxûbê xwe borî û gunehkar, didine derewdêrandinê.
13. 13Gava beratenê me ji bona wî ra, tên e xwundinê ewî (aha) gotîye: "Evan çîvanokê berêne."
14. 14Na! (bi gotina wan nîne). Lê bi rastî bi sedema keda wane kirî gemarê li ser dilê wan girtîye.
15. 15Na! (bi gotina wan nîne, keda wan jî bi tenê nîne) loma bi rastî ewanan di wê royê da ji Xuda yê xwe rûreş in.
16. 16Paşê ewanê li bal doji da bîne avêtinê.
17. 17Wê hej paş da ji bona wan ra aha bêgotinê: "Ewa tişta ku wê pê bawer ne dikir, eva ye (îdî de ji şapata wê çeşne bikin)."
18. 18Na! (wekî gotina we nîne) loma bi rastî nivîsara kirinê wanê qencîkarê, di jora bilinddan in.
19. 19(Muhemmed!) tu ji ku dizanî, ka jora bilind çîye?
20. 20Ewa (jora bilind deftereke wusane) hemû kirinan tê da cî hildan e.
21. 21Ewan (ferîştene) nêzîk, nêhrewanî ya wî dikin.

22. 22Loma bi rastî qencîkar di (behişta) xurekadan in.
23. 23Li ser kursîyan temaşa dikin
24. 24Tu di rûyê wan da, şopa qencîyan nîyas dikî.
25. 25Ewan, bi meya devgirtî ye xurî tên e avdanê.
26. 26Derxûnê wî miske (ya jî daw ya wê meyê misk e). Îdî bira dexes (di van xelatan da) dexesî bikin.
27. 27Pê vexwarina wê (meyî) meya bi nav Tensîm e.
28. 28Ewa (Tensîm a) kanyeke wusane, ji wê (kanîyê) hey ewanê nêzîkê (Yezdan) vedixun.
29. 29Bi rastî ewanê gunehkarî dikirin hene! Ewanan, bi wanê bawer kiribûn e dikenîyan.
30. 30Gava ewanê (gunehkar) li bal wanê (bawerker da) diborîn li hev mêze dikin çav diniqîn in (bi bawerkeran tinazan dikin).
31. 31Û gava (ewan gunehkaran) li bal malînê xwe da zivirîn e, ewan bi xweşî (bawerkeran) di nava xwe da bi ken mijûl dibin.
32. 32Û gava (ewan gunehkaran, bawerker) dîtin e; ji hev ra (aha) gotin e: "Bi rastî evan (bawerkeran) rêya xwe wunda kirin e."
33. 33Ewan (gunehkaran dizan in) ku bi dîdevanî li ser wan (bawerkeran) ne hatin e şandinê, ji bo ku ewan biparisîn in.
34. 34Îdî di îro da jî ewanê bawer kirin e hene! ewan (bi wanê gunehkar) di ken in.
35. 35Ewan (bawerkeran) li ser textegahan (li wan filan) mêze dikin.
36. 36Çane! (ka mêze bikin) gelo filan gerewa kirinên xweyên dikiribûn e, dîtin e?

## Chapter 84 (Sura 84)

1. 1Gava ezman derizî.
2. 2(Ezmen) ji Xuda yê xwe destûr xwest (ku bi sitûxarî wekî babetî ya wî) bi gotina wî (perestî ya) wî bike.
3. 3Û gava zemîn direj bûye (rast bûye).
4. 4Û di hundurê (zemîn da) çi heye, hemî avêtî ye derva, îdî vala maye.

5. 5Û (zemîn) ji Xuda yê xwe destûr xastîye (ku bi sitûxarî wekî babetîye wî) bi gotina wî (perestî ya wî) bike.
6. 6Merivo! Bi rastî tu dixebitî, ku tu herî bal Xuda yê xwe, îdî (tu wusa bixebit e) tu yê bigehêjî wî.
7. 7Di wê gavê da îdî pirtûka kîjanî (bi destê) rastê bê danê.
8. 8Ewê hijmarek e hindik û hêsanî bibîn e (derbasbibe).
9. 9Û ewa li bal malîne xwe da bi şahî dizvir e.
10. 10Lê pirtûka kîjanî di alîyê pişta wî da hatibe daînê.
11. 11Îdî ewê ji bona xwe ra gazî teşqela bike.
12. 12Ewê li bal doja pêtan da bê kişandin e.
13. 13Loma ewa (di cihanê da) di nava malînê xwe da dilşabû ye (qe tiştek ji vê şapatê ne dianî bîra xwe).
14. 14Loma bi rastî (ewê gunehkar) guman kiribû, ku bi rastî îdî ranabe. -1ı
15. 15Na! (bi rastî wê bêne şandinê) loma bi rastî Xuda yê wî ewî dibîne.
16. 16Ho! Bi segura sibehê.
17. 17Û bi şevê û bi wan tiştên, ku şevê di xwe da pêçaye.
18. 18Û bi hîva (çarde) şevî.
19. 19(Sond dixum!) ku hûnê ( bi temtilekî li bal temtêla mayî da bêne rêkxistinê.
20. 20Îdî gelo ji bona wan (filan ra)çi bûye, ku ewan hêj bawer nakin?
21. 21Û gava ku Qur´an ji bona wan ra tê xwundinê ewan (ji bona Yezdan ra) kunde nabin?
22. 22Lê ewanê bûne file hene! (gava Qur´an ji bona wan ra tê xwundinê) ewanan (Qur´an ê) didine derewdêrandinê
23. 23Yezdan bi xweber jî (ewa tişta, ku ewan filan di hundurê xwe da veşartin e) bi wan çêtir dizane.
24. 24Îdî (Muhemmed!) tu ewan (filan) bi şapateke dilsoz bide mizgîndanê.
25. 25Bi tenê ewanê bawer kirine û karê aştî kirin e hene! kêryeke bêpaşî ji bona wan ra

## Chapter 85 (Sura 85)

1. 1Bi wî ezmanê xwedîyê beden.

2. 2Bi wî roya hatîye peymandanê.
3. 3Û bi nehrivan û dîtinê wî va.
4. 4(Sond dixum!) ku hevrîne çala (agir) hatine kuştinê.
5. 5Ewa (çala) xayê agirê pêketî ye.
6. 6Ewan (cewr karan) gava (meriv di avêtina agir) bi xweber jî li ser (agir) rûniştîbûn e.
7. 7Ça jî ewan (cewr karan) tişta bi serê bawerkeran dihate kirinê, bi xweber didît in.
8. 8Ji ber, ku ewan biYezdan ê servahatê pesinvan bawer kirin e ewan (cewr karan) ji wan (bawer karan) tûla (bawerî) hildan e.
9. 9Ewê, ku seroktî ya ezman û zemên ji bona wî ra ne heye! Ewa (Yezdan ê servahatê pesinvan e). Bi rastî Yezdan nehrîvanê hemî tiştan e.
10. 10Bi rastî ewanê, ku ji bona mêr û jinê bawerker ra cefayê di din û paşê ji kirinê xwe jî poşman nabin hene! Ji bona wan ra şapata dojê heye û ji bona wan ra şapata şewitandinê heye.
11. 11(Lê) ewanê, ku bi rastî bawer kirin e û karê aşitî kirin e hene! Ji bona wan ra behiştên wusa hene, di binê (darê) wan da çem dikişin. Serfirazî ya mezin eva ye.
12. 12Bi rastî (şapata) Xuda yê te (ku bi wan cewr karan digire) pir zor e.
13. 13Loma bi rastî (Xuda yê te di cara yekem da ewan) afirandin e (ji piştî mirinê, dîsa ewan para da) dizvirîn e.
14. 14Baxişkarê, hizker (Xuda yê te bi xweber e.)
15. 15Xweyê erşê pesinvan ewa bi xweber e.
16. 16(Xuda yê te) çi bivê ewî pêk tîn e.
17. 17Maqey bûyara leşkerê.
18. 18Fir´ewn û Semûd ji bona te ra ne hatî ye?
19. 19Lê ewanê filetî kirin e hene! Ewanan .
20. 20Û bi rastî ewanan hêj di pişta hevdan in, Yezdan (bi zanîna xwe) ewan som kirin e.
21. 21Na! (wekî ewan ça dibêjin: "Qur´an hinek peyv in hatin e aloz e kirinê" gotina wan nîn lê) Qur´an (Pirtûkeke) pesinvan e.
22. 22Di rûperên parisvandan in.

## Chapter 86 (Sura 86)

1. 1Bi ezman û bi sitêrka quloker.
2. 2(Muhemmed!) ka tu ji ku dizanî ewa (sitêrka) quloker çîye?
3. 3Ewa sitêrka bi runahî û rêjoke ye.
4. 4(Sond dixum!) ku li ser hemû candaran, parisvanekî wî heye.
5. 5Ka bira meriv mêze bike ji çi hatîye afirandinê?
6. 6Ewa (meriva) ji avekehilavok hatîye afirandinê.
7. 7Ewa (ava) ji pişta (mêran) û ji nava (her du) memikê (jinan) derdikeve.
8. 8Bi rastî (ew Yezdan ê, ku bi vî awayî merivan biafirîn e; ji piştî mirinê) di şî ku ewan para da bizvirîn e.
9. 9Di roya, ku hemû (veşartî) wê derkevin xûya bibin.
10. 10Îdî ji bo wî merivî ra qe tu hêz û arîkarî namîn e.
11. 11Û bi wî ezmanê (ku avê hildid e û) para da dîsa dizvirîn e.
12. 12Û bi wî zemînê (ku ji bona hêşîna ya) çiryanê derizî.
13. 13(Sond dixum!) ku ewa (Qur´an a) bi rastî pûçî û rastîyê ji hev ra diqetîn e.
14. 14Û ewa (Qur´an a) tinaz nîn e.
15. 15Bı rastî ewan (filan ji bona pûçatê ya Qur´an ê) endezan dikin.
16. 16Ez bi xweber jî (ji bona girtina wan) defikan pev dixim.
17. 17Îdî (Muhemmed!) tu ji bona wan filan ra firsetê bide, bira ewan hedî-hedî (di rê ya xwe da her in.

## Chapter 87 (Sura 87)

1. 1(Muhemmed!) tu bi navê Xuda yê xweyê bilintir paqîjî ya vî ji kêmayan bike.
2. 2Ew (Xweda yê te) afirandin kirîye, îdî bi pêkanî rast kiriye.
3. 3Ewî ji hemû heyan ra (temtêla wan) pîvaye, îdî paşê anîye rêya rast.
4. 4Ewî kovîçêr derxistîye.
5. 5Îdî paşê ewa (çêra) xistêye gîhakî reşê hişk maye.
6. 6(Muhemmed) di nêzîk da (bi Cibraîl) emê (Qur´an ê) ji te ra bidin xûndinê, îdî tu bîrva nekî.

7. 7Ji pêştirê tişta Yezdan (bîrva kirina wê) va ye. Loma bi rastî Yezdan bi tişta xûyayî û bi tişta veşartî dizane.
8. 8Û emê ji bona te ra rêya hêsabûna (berkirinê) pêk bîn in.
9. 9(Muhemmed) heke şîreta (bi Qur´an ê)ji bona wan ra kêr tê tu ji wan ra şîretan bike.
10. 10Bi rastî ewê (ji Xudê) bitirs e, wê (ji Qur´an ê) şîretan hilde.
11. 11Ewê gunehkarê ji rê derketî heye! Ewa jî xwe (ji şîretê Qur´an ê) diparisîn e.
12. 12Ewa di agirê mezin da tê avêtinê.
13. 13Paşê (di agirda jî) ne dijî û ne jî dimire.
14. 14Bi sond! Ewê ku xwe ji (gunehan) paqij kirîye haye! Ewa feredte bûye.
15. 15Îdî ewî bi navê Xuda yê xwe şîret hildaye û nimêj kirîye.
16. 16Lê hûnê jîna cihanê heldibijêrin.
17. 17Jîna parada jî (ji jîna cihanê) çêtir û mayîtir e.
18. 18Bi rastî evan (şîretan) di pirtûk û rûpelên berêda jî hebûn e.
19. 19Ewan rûpelan, rûpelê Ibrahîm û Mûsa nin.

## Chapter 88 (Sura 88)

1. 1Bi sond! Ji bona te ra ji bûyera (Qarsê, ku hemû tiştî kavil dike) peyv hatîye.
2. 2Di wê rojê da hinek rû hene, melûl dibin.
3. 3Xebitîne(westîyane) bi kerbî hatine teşqeladanê.
4. 4Di agirê sor da têne avêtinê.
5. 5Ji kanîyeke kel da vedixun.
6. 6Ji pêştirê (berêdara) ererê qe tu xwarina wan tuneye.
7. 7(Ewa) bi xwarinê qelew nabin, ça ji birçîbûnê jî fereste nabin.
8. 8Di wê rojê da hinek rû jî hene, di nava xwarinan da (berxudarin).
9. 9Ji bona xebata xwe ye (cihanê) qayîl in.
10. 10Ewanan (di behiştê da) qe tu (axiftinê) kêr nehatî nabîhên.
11. 11Di (behiştê da) kanînê avê wan dikişin hene.
12. 12Û textegahên hatine bilind kirinê hene.
13. 13Û şel bikne (avê) bi tijî amade (hene)

14.14Û balgînê rêzkirî (hene).
15.15Binraxne baha (hene).
16.16Maqey ewan (merivan) îdî li bal devê da mêze nakin, ka ça hatîye afirandinê?
17.17(Ewan) li bal ezman da jî (mêze nakin) ka ça hatîye bilind kirinê?
18.18Û li bal çîyan da jî (mêze nakin) ka ça hatine çikandinê?
19.19Û li bal zemin da jî mêze nakin) ka ça hatîye çê kirin û raxistinê?
20.20Îdî (Muhemmed!) Tu (ji bona wan ra) şîretan bike. Loma bi rastî hey tu şîret karî.
21.21Tu (ferman dêrekî) li ser wan hetibî (Verêhte kirinê) ku bi zor ewan bînî ser gotina xwe, nînî.
22.22Lê kîjan (ji piştî şîretan) rû fetilandibe û bibe file.
23.23Îdî Yezdan ê ewî bi şapateke meztir bide şapat kirinê.
24.24Loma bi rastî vegerandin û êwra wan bal me dane.
25.25Paşê bi rastî hijmara (kirinê wan) li ser meye (emê bihijmir in).
26.26

## Chapter 89 (Sura 89)

1. 1Bi Segura (sibehê).
2. 2Bi wan deh şevê (bi nev û nîşan).
3. 3(Bi hemî afırandê) zo û kit.
4. 4Û bi şevê gava di çe.
5. 5Ji bona xayî hişan ra bi rastî di vane borî da sond û ewletî heye.
6. 6Maqey tu nabînî, ku Xuda yê te komalê Ad ça şapat kirîye?
7. 7Ewan (komelekî wusa bi hêz bûn) wekî sitûnan bilind bûn.
8. 8Ewan (komalên wusa bûn e) ku wekî wan tu komal di welatan da ne hatine afirandinê.
9. 9Û ewan Semûdîne di newalan da, zinar qul dikirin (ji bo ku ji xwe ra xanîyan ava bikin, Xuda yê te ça şapat kirîye?
10. 10Û (Xuda yê te) Fir´ewn ê xwedîyê hêz û singê jî ça şapat kirîye?
11. 11Ewan di welatan da (bi zorbetî) ji ava rû derketibûn.
12. 12Îdî ewan di welatan da pir cewr kiribûn e.

13. 13Xuda yê te jî, îdî li ser wan da şapatek e zor rijandîye
14. 14Loma bi rastî Xuda yê te (di hemû deman da) dîdevanê (bendeyê xwe ye).
15. 15Îdî gava Xuda bivê, ku merivan biceribîn e; ewa merivê, ku Xuda yê wî ji bona wî ra berxudarî dabe (aha) bêje bi rastî Xuda yê min ji min ra qencî kirîye.
16. 16Lê gava Xuda yê wî ewî bi ceribîne,îdî rojînê wî kêm bike û bê pêar bike îdî ewa jî (aha) di bêje: "Bi rastî xuda yê min, ez riswa kirime."
17. 17Na! (bi gotina we nîne) lê hûn (gelî merivan!) rûmeta sêwyan na girin.
18. 18Û hûn ji bona xurek dana belengazan helana nadene hev.
19. 19Û hûn mîratê qe ji hev naraqetînin, hemî tevê hev dixun.
20. 20Û hûn ji civandina mal pir hez dikin.
21. 21Na! (evan kirinê we rast nînin) gava zemîn hejîya bû toz.
22. 22Û (gava) Xuda yê te hat; ferişte bi gargî rêz bûn.
23. 23Di wê rojê da doj jî hatîye anînê. Di wê rojê da meriv kirinê xwe tîne bîra xwe, îdî (di wê rojê da) bîranîna wî ji bona wî ra wê ça kêrê wî were?
24. 24(Di wê gavê da meriv aha) di bêje: "Xwezîka min ji bona vê jîna xwe ra hêj di berê da (qencî) şandibûnan."
25. 25Îdî di wê rojê da wekî şapata (Yezdan) qe tu kes şapatê nake.
26. 26Û tu kes jî wekî girêdana (Yezdan) girêdanê nake.
27. 27Gelî canê rawestîyayê hewda î!
28. 28Tu li bal Xuda yê xwe da bi qayîlî bizvire.
29. 29Îdî tu bikeve nava bendenê minê (xurî).
30. 30Û tu bikeve behişta min.

## Chapter 90 (Sura 90)

1. Ho! Ez bi vî bajarî sond dixum.
2. Û tu bi xweber jî di nava wî da rûniştî yî.
3. Û bi nişa merivan û bi ûrta wan.
4. (Sond dixum) ku me nişa merivan (di nava) zoratîyê da afirandîye.
5. Maqey ewa meriva guman dike, ku hêza tu kesî pêda naçe?
6. (Ji bona pesindanê aha) di bêje: "Min di vê rê da bi kulûra mal sixurandîye."
7. Maqey ewa guman dike, ku kes ewê kirina wî nabîne?

8. Qey me ji bona (merivan ra) du çav ne daye.
9. Û zimanek û du lêv (nedaye)?
10. Û me ji bona (merivan) du rê; (rêya qenc û xirabîyan) daye.
11. Îdî ewî (merivî, ji bona sipazîya di hemberê van qencîyan) qe xwe ne avite tu gaz û bêlanê zor.
12. Gaz û bêlanê zor, ka çîye tuyê ji ku bizanî?
13. Ewa (kara) vekirina (zincîra) kolan e (ku tu ewan azad bikî).
14. Yan jî di rojeke axilve da dayîna xurekan e.
15. Ji bona sêwîyên pismam ra.
16. Yan jî ji bona wan belengazê, ku ji birçîya xwe li ser xwelîyê dirêj kirene.
17. Hêj paşê ewa dibe ji wanê bawer kirin e û şîreta bi hewdana (di hemberê cewr û aşîtan da) li hev dikin û bi dilovanî ya li hev kirinê dikin.
18. Hevrîne bi nutûv û rast evan in.
19. Ewanê bi beratenê me bûn e file hene! ewan jî hevrîne bênutûv û çep in.
20. Agirê ku derê wî tê girtinê, ji bona (vanan ra)ne.

## Chapter 91 (Sura 91)

1. Bi roj û bi ruhnaya wê.
2. Û bi hîva gava li pey (rojê) derdivebe
3. Û bi wî roya gava (roj) ewê (vedike.
4. Û bi wê şeva gava taritî ewê som dike.
5. Û bi ezman bi avakerê wî.
6. Û bi zemîn û bi wê, ku (zemîn bi gulokî) raxistîye.
7. Û bi can û (bi wîyê, ku can) bi rûçikî (afirandîye).
8. Îdî ji bona wî (canî ra) gunehkarî û parisandina (ji gunehan) niqandîye.
9. Sond dixum! Kîjan canê xwe ji sikatîyan bi parisîne ewa serfiraz bûye.
10. Û sond dixum! Kîjan ketibe sikatîyan (ji rêya rast derketibe) bi rastî ewî zîyan kirîye.
11. (Komalê) Semûd ji qurebûna xwe (Pêxemberê xwe) dabûne derewdêrandinê.
12. Gava mêrxasên wan serî hildane.

13. Îdî qasêdê Yezdan ji bona wan ra (aha) gotîye: "hûn dest ji deva Yezdan û ji ava vexarina wê berdin.
14. Îdî ewan (mêrxasan pêxember) dane derewdêrandinê; Ewan serê devê jêkirin, îdî Xuda yê wan jî bi sedema gunehê wan şapat li ser wan da pêyweste kir; ewan (bi welatê wan va bi dêrizayî rast kir.
15. Û (Yezdan bi xweber jî) ji encama (şapatê) natirse.

## Chapter 92 (Sura 92)

1. Bi şeva gava taritî ewê som dike.
2. Bi roya gava derdikeve (rohnaî dike).
3. Bi wîyê ku nêr û mê afirandîye.
4. (Sond dixum!) ku xebata we bi rastî cure û cureye.
5. Îdî kîjan (ji bona xezanan ra mal) bi sixurîne û Xuda parizî bike.
6. Û (perestîne) qenc jî bike û rast bi dêrîne.
7. Îdî emê ji bona wî ra (hatina li bal rêya rast da) hêsanî bikin.
8. Kîjan jî çikûsî bike û xwe (ji Yezdan) ne hewce bibîne.
9. Û qencê (gotinan jî) bide derewdêrandinê.
10. Îdî emê ji bona wî ra (çûna li bal rêne zehmet da) hêsanî bikin.
11. Û gava ewa bikeVe dojê, malê wî qe ji bona wî ra tu karê nake.
12. Loma bi rastî hatina wî li bal rêya rast da li ser meye.
13. Û bi rastî cihan û parada jî ji bona me ra ne.
14. Îdî min hûn (gelî gunehkaran!) Bi agirekî pêtdayî dane hişyar kirinê.
15. Ji pêştirê wanê rûreşê ji rêya rast derketî, tu kes nakeve wî agirî.
16. Ewî (rûreşê) maf daye derewdêrandinê, pişta xwe daye (mafê).
17. Bi rastî ji wî (agirî) merivê Xuda pariz tê dûr xistinê.
18. (Ewê Xuda pariz) ew e, ku malê xwe (di rêya Yezdan da )sixurandîye (mali xwe) paqij kirîye.
19. Û (li bal Yezdan) ji bona tu kesekî ra qe tu qencîyek tuneye, ku ewan bi wê qencîyê bêne xelat kirinê.
20. Ji pêştirê (maldana) ji bona qayîl bûna (Xuda yê xwe) yê bililindtir (heke dabe).

21. Di nêzîk da jî (ewa qencîya) ku Xuda yê wî (ji bona wî ra bide, ewê) bi wê qencîyê qayîl bibe.

## Chapter 93 (Sura 93)

1. Bi (danê) taştê.
2. Bi şeva gava tarîtîya wê hewya.
3. (Sond dixum!) Ku Xuda yê te dest ji te bernedaye ji te jî ne xeyîdîye.
4. Û bi rastî (danê para da) ji bona te ra (ji danê) cihanê çêtir e.
5. Û Xuda yê teyê bi rastî ji bona te ra di nêzîk da dayîneke wusa bide, ku tu bi wê dayînê qayîl bibî.
6. Maqey (Xuda yê te)gava tu sêwî bûyî tu xweyî ne kirî?
7. Gava tu wundayî bûyî ewî tu ne anî li ser rêya rast?
8. Gava tu xêzan bûyî ewî tu zengin ne kirî?
9. Îdî tu bi tucureyî li sêwîyan zorê neke.
10. Û bi tu cureyî parsekan bê par neke.
11. Û tu bi wan qencîne, ku Xuda yê te bi te kirîye bi axive.

## Chapter 94 (Sura 94)

1. (Muhemmed!) maqey me ji bona te ra singê te venekirîye (ku tu îdî zanîna retkokî bi zanî)?
2. Meqey li ser te barê te hil nedaye?
3. Ku ewî (barî ji giranîyê) pişta te dişkênand.
4. Maqey me ji bona te ra nav ü dengê te bilind nekirîye?
5. Îdî bi rastî bi her tengayîyê ra firetîyek heye.
6. Bi rastî jî bi her tengayîyê ra firetîyek heye.
7. Îdî gava (Muhemmed!) tu ji karê xwe valabûyî (rabe) bi karekî dinê ra xebatê bike (nehewe).
8. Îdî li bal Xuda yê xwe da bizvire (perestî bike).

## Chapter 95 (Sura 95)

1. Bi hêjîr û zeytûnan.

2. Û bi çîyayê Sîna yê.
3. Û bi vî bajarê ewle.
4. (Sond dixum!) ku me meriv bi rastî di rindê rûçikan da afirandîye.
5. Me paşe ewa (meriva) li bal (tema pîr da) zivirandîye (ku ji pistî zanînê hemî tiştan bîrva bike).
6. Ji pêştirê wanê bawer kirine û karê aştî kirine, îdî ji bona wan ra jî kêreke bê paşî heye.
7. Îdî (Ji piştî van beratan) ka (merivo!) ji bona te ra çi bûye, ku tu bi ola (Xuda û bi roya xelat û celatan) viran dikî?
8. Maqey tu (bawer nakî) ku berawanê berewanan Yezdan e?

## Chapter 96 (Sura 96)

1. (Muhemmed!) tu bi navê Xuda yê teyê, ku tu afirandîyî bi xûne.
2. Ewî meriv ji zûryan afirandîye.
3. Tu bi xûne! Û Xuda yê te pir rûmetdare.
4. Ewî (bi merivan nivîsandina) bi gilîgo û nivîsdarokî daye hînkirinê.
5. Tişta, ku merivan nizanbûye ewî bi wan daye hînkirinê.
6. Na! (di hemberê van qencîyan da) bi rastî meriv ji avarû derketîye.
7. Ji ber, ku ewa (meriva) xwe ne hewce dîtîye.
8. Bi rastî para zıvirandin hey li bal Xuda yê te dane (wê hijmara kirinê wan bibîne).
9. Qey tu ewê, ku paradanê dike nabînî?
10. Gava bendek nimej dike (ewî dide para da na hêle nimej bike).
11. Tu dibînî; heke;ewa (bendê nimêj; dike) li ser rêya rast be?
12. Yan jî ewa (benda) fermana bi Xuda parizî bike?
13. Tu di binî; heke ewa (bendê paradanê dike) pişta xwe bide (van şîretan û) bide derewdêrandine? (wê gavê ewê bizane ka wê çi bê serê wî).
14. Maqey ewa nizane, ku bi rastî Yezdan bi hemû kirinê wî (dizane û) dibîne?
15. Na! heke ewa (ji wan kirinê xwe poşman nebe) parada nefitile, bi rastî emê bi tûncika wî bigirin (ewî li bal dojê da) bi kişînin.
16. Bi tûndcika wî virekê gunehkar (bigirin).
17. Îdî bi ra ewa (here) gazî hemnişînê xwe bike.

18. Emê jî gazî feriştene xwene (parisvznê dojê bi navê) zabanî bikin.
19. Na! (Muhemmed!) qe tu bi gotina wî (gunahkarî) neke ü tu (ji bona Xuda yê xwe ra) kunde bihere û nezîkê wî (Xuda yê xwe be).

## Chapter 97 (Sura 97)

1. Bi rastî me ewa (Qur´an a) di şevekê wuse da hînartî ye (ku pîvana kirina hemû tiştan di wê şevê da çê dibe.)
2. (Muhemmed!) ti ji ku dizad ka şeva pivanê çîye?
3. Şeva pîvanê şeveke wusane ji hezar mehên (ku di wan mehan da perestî bê kirinê) qenctire.
4. Ferişte û can bi destüra Xuda yê xwe (şevê da boyerên, ku ji bona wê salê hatine pîvandinê) bi hînartin tînin.
5. Heya segura sibehê (ewan feriştan hey) berxudarîyê(di hênirînin)

## Chapter 98 (Sura 98)

1. Ewanê xweyê pirtûkên, ku bûn e file û ewanê hevrî çêker hene! Heya ji bona wan ra (berateke) huzwartî neyê (ewan ji hevaltîyan) xwe venabin.
2. Ewa (berata) qasidekî wusane ji alîyê Yezdan da hatîye şandinê, ku ji bona wan ra rûpelên paqij bi xûne.
3. Di wan (rûpelan da) nivîsanê (biryarê) wusa hene, mafan bi rastî vedikin.
4. Ewane xweyê pirtûk hene! ji piştî, ku ji bona wan ra berata huzwartî hatîye, paşê dutîretî di nava xwe da çêkirine.
5. Ewan (xweyê pirtûkan) bi tenê (ji alîyê qasid da) hey aha hatibûnê ferman kirinê; ku xurî ji bona Yezdan ra perestî bikin, loma ola rast hey ji bona (Yezdan ra) heye û nimejê bikin û baca malê xwe bidin û ola mafe rast şixwa eva ye.
6. Bi rastî ewanê xwedîyê pirtûkne, ku bûne file û ewanê hevrî çêker hene!Ewanê di agirê dojê da her bimînin. Sikne heyîne reşayîyê evan in.
7. Ewanê bawer kirine û karê aştî kirine hene! Qenctirne heyîna reşayîyê evan in.
8. Xelata wan li bal Xuda yê wan behişta xarinane;(Behiştake wusane) ku di binê (darê wêda) çemê (avê) dikişin. Ewanê di wê (behiştê da) her bimînin.

Yezdan bi wan qayîl e û ewan jî (ji dana Yezdan) qayîl in. Ewê, ku ji Xuda yê xwe ditirsîya ye (bê gotina wî ne kiriye) heye! Eva xelata ji bona wî ra ne.

## Chapter 99 (Sura 99)

1. Gava zemîn bi heja (zor) hejya.
2. Û (gava) zemîn (ji hundurê xwe kanî û gewherê xweyên) giran derxistine (derva).
3. (gava) meriv (aha) di bêje, "Ji bona (zemîn ra)çi bûye (ku aha diheje)?"
4. Di vê rojê da (zemîn) ji hemî (bûyerên, ku li ser hatine kirinê) di peyîve.
5. Loma bi rastî Xuda yê te li bal (zemîn da) niqandibû, (ku hemû bûyeran bêje).
6. Di wê rojê da, meriv deste deste (ji qorê xwe) derdikevin, ji bo ku kirine xwe bi bînin.
7. Îdî kîjanî wekî çirûskekî qenccîyek kiribe, wê ewê hey (hemberya wê qencîya xwe) bibîne.
8. Û kîjanî jî wekî çiruskekî sikatîyek kiribe; wê ewê hey (hemberya wê sikatîya xwe) bibîne.

## Chapter 100 (Sura 100)

1. Bi wan hespên behindayî.
2. Û bi wan hespên, ku (bi simên xwe çirûskên) agir derdixin.
3. Û bi wan hespên, ku (di êrişa serê sibehê da) tozê derdixin.
4. Û bi wan hespên, ku (bi wê êrişa xwe, bi tozê) şop li pey xwe hîştine.
5. Bi vî awayî ewan (hespan bi sîyarê xwe va) di nava neyaran da cî vedane.
6. (Bi van sond dixum!) ku meriv bi rastî ji bona Xuda yê xwe ra pir nankor e.
7. Û bi xweber jî nihrevanê vê kirina xwe ye.
8. Û bi rastî (meriv) ji bona civandina mal ra zor hizkere. .
9. Ma qey meriv nizan e, gava tiştên di goran da heyî radibin (ji bona civînê) têne şandinê (we gavê temtêla wan ça dibe)?
10. Wê (gavê çi)di dilê wan da heye derketî ye hatîye xu yandinê.
11. (Erê!) di wê rojê da Xuda yê wan bi temtêla wan agahdare.

## Chapter 101 (Sura 101)

1. Lêdana (bi zor)yera heye!).
2. Ewa (boyera zor, ku dilan çirîne, ewa bûyera heye!).
3. Tu ji ku dizanî, ka ( bûyera lêdana) zor çîye?
4. Di wê rojê da meriv wekî wan perperokên (ku di gava rabûnê da ça ji hev belav dibin) ewan jî wusa ji hev belav dibin.
5. Û çîya jî wekî hirya jenî dibin (ji hev di herikin).
6. Îdî kîjan (merivê) ku kêşa wî giranbe.
7. Ewa di jîneke qayîlbûdane.
8. Lê kîjan (merivê) ku kêşa wî sivikbe.
9. Îdî di pêşya wî da (doja bi nav) Hawîye heye (ewê here wura).
10. Tu ji ku dizanî ka (Havîye) çîye?
11. Ewa agirekî sor e.

## Chapter 102 (Sura 102)

1. Pesindana (bi mal û mêran) wusa hûn dane mujûl kirin.
2. Heya hûn diçûne nava goran (we mirîne xwe didane nîşanê hev).
3. Na! (wekî gomana we nîne) lê hûnê di nezîk da (bi xeletî ya xwe) bi zanin.
4. Dîsa na! (wekî gotina we nîne) hûnê di nezîk da bi rastî (bi xeletî ya xwe) bi zanin.
5. Na! (wekî gomana we nîne) lê heke bi rastî we (maf) bi zanî ya ( we wusa ne dikir).
6. Bi sond! hûnê dojê bi bînin.
7. Dîsa bi sond! hûnê ewê (dojê bi çavekî tûj) bi bînin.
8. Di wê rojêda hûnêpaşê ji wan qencîne (bi we ra hatine kirinê) bêne pirs kirinê.

## Chapter 103 (Sura 103)

1. Bi gav û danan.
2. (Sond dixum!) ku meriv di zîyanêdanin.

3. Ji pêştirêwan (merivne) ku bawerkirine ûkarê aştî kirine û şîreta (parisandina) mafê û şîreta bi hewdana (1i ser cefadanê) li hev dikin.

## Chapter 104 (Sura 104)

1. Ewanê ku bi zimanê xwe bi (merivan) tirana dikin û bi çav û birûyê xwe va niqandinêdikin (merivan didine nîşanê hev) hene! Xwelî li wan hemûyan be.
2. Ewî mal civandîye qe nahewe, tim ewî malî dihijmire.
3. Ewa guman dike, ku malêewî (di cihanê da) tim carî bide jînandinê.
4. Na! (bira ewa wusa guman neke) bi rastî ewê li bal (doja bi nav) Hutem da bê avînê.
5. (Muhemmed!) tu ji ku dizanî, ka Hutem çîye?
6. (ewa) agirê Yezdan ê ( pêketîye.
7. Ewa (agira) li ser dilan bilind dibe (qe ji dilan dernakeve).
8. Bi rastî (derê wê dojê) li ser wan hatîye girtinê.
9. Ewan di (nava) sitünê direj da (bi giredayî) wê bi mînin.

## Chapter 105 (Sura 105)

1. Maqey te nedît, ku Xuda te hevalê fîlan (ça şapat kirîye)?
2. Maqey (Xuda yê te) endeza wan(nexistîye şimitandina) wundabûna wan?
3. Û (Xuda yê te)li serwan da refref (Çukê bi nav hecheck) şandîye.
4. Ku ewan (hecheckan) li ser wan da (xuryêkeviran) di avêtin.
5. Îdî (Xuda yête ewan wusa qul-qulî kirin, te digo qey) ewan belgê kurma xarîne(wusa bedena wan qulbû ye).

## Chapter 106 (Sura 106)

1. Bira ji bona hogirîya Qureyşîyan
2. Ji bo ku (Yezdan) ewan (Qureyşîyan) hînê barkirina di zivistanê da (li bal Yemenê) û barkirina havînê (ûbal Şamê da kirîye) bikin.
3. Îdî bira ewan (Qureyşîyan) ji bona Xuda yê vî xanî (ku Kebe ye) perestîye bikin.

4. Ewî (Xuda yê) ewan (Qureyşîyan) ji birsînê têrkirîne û ewan ji tirsê ewle kirine.

## Chapter 107 (Sura 107)

1. (Muhemmed!) qe te ewê, ku ol dida derewdêrandin e dîtîye?
2. Îdî ewa sêwîyan dide ber nuqoçkan (li wan cewr dike).
3. Û ewa ji bona xurekdana belangazan jî helana nade (maldaran).
4. Îdî ewanê! nimej dikin hene! xwelî li wan be.
5. Ku ewan (merivênwusanin qe tu rûmetê) nadin e nimeja xwe.
6. Ewan ji bona gotinê nimej dikin.
7. Ewan qe bi destê tu xezanî jî nagirin.

## Chapter 108 (Sura 108)

1. (Muhemmed!) Bi rastî me ji bona te ra (bostanne) ku ava wan hilwejokin daye.
2. Îdî tu ji bona Xuda yê xwe ra nimej bike û (ji bona qayîlbûna wî) goryan jêbike.
3. Birastî hey dexesê te bi xweberin poçik birne bêdûmdan in.

## Chapter 109 (Sura 109)

1. (Muhemmed! tu ji bona wan ra aha) bêje; " gelî filan!"
2. Tişta, ku hûn jê ra perestî dikin ez ji bona wî ra perestî nakim.
3. Û hûn jî tişta,ku ez jê ra perestî dikim perestok nînin.
4. Û ez bi xweber jî perestokê wî tişta, ku hûn jê ra perestî dikin nînim.
5. Û hûn bi xweber jî qe perestokê wî tişta, ku ez ji wî ra perestî dikim nînin.
6. Ola we ji bona we ran e û ola min jî ji bona min ran e.

## Chapter 110 (Sura 110)

1. (Muhemmed!) gava arîkarya Yezdan hatibe.
2. te jî dît, ku meriv deste û deste dikebine ola Yezdan.

3. Îdî tu bi pesindana Xuda yê xwe (perestî bike, ewî) ji kêmayan paqij bike û baxişandina xwe ji wî bixwaze.Loma bi rastî ewa (Xuda yê te) poşmanîyan pur litê dike.

## Chapter 111 (Sura 111)

1. Her du destê Ebî Lehib şîl bibe, şixwa şîl bûye jî.
2. Mal û keda (Ebî Leheb) ewa (ji şapata Yezda) neda parisandinê.
3. Di nêzîk da ewê li bal agirekî bi alev da bê avîtinê.
4. Û Jina wîye, ku êzinga dikişine jî (dikebe agir).
5. Di sitûyê (wê jinêkê da) kapekî li hev alyaî heye

## Chapter 112 (Sura 112)

1. (Muhemmed! Tu aha) bêje, "Ewa Yezda-nekî bi tenêye."
2. EwaYezdanekî wusane (qe tu xarin ve xarin û darxistin ji bona wî ra tuneye, hemû heyî hewcene wîne.)
3. Na zêyîne û qe tu kesî jî ewan nazandîye.
4. Û ji bona wî ra qe tu kesê babetî tuneye.

## Chapter 113 (Sura 113)

1. (Muhemmed! tu aha) bêje, "Ez xwe davêjime (berbextê wî Xuda yê, ku şevê) diçirîne (sibehê) derdixe."
2. Ji sîkatîne hemî tiştê aferandîye.
3. Û ji sikatîya şevê gava tarî dibe.
4. Û ji sikatîya ançkeran, ku pufe girya dikin; girê didin.
5. Û ji sikatîya Dexesan, gava dexesî dikin.

## Chapter 114 (Sura 114)

1. (Muhemmed! Tu aha) bêje, "Ez xwe davêjime berbextê Xuda yê merivan."
2. Ku serokê merivan e.
3. Yezdan ê (babetê perestîya) merivan e.
4. Ji sikatîne sêwrandinê Pelîd.

5. Ew Pelîd e, ku di singê merivan da sewrandinê çê dike.
6. Ku ji meçêtir merivan in. (Ewê sewrandinê sik çê dikin; çi meriv û çi meçêtir; hemî jî fermanê sikatîya dikin: Ewan Pelîd bi xweberin).